ENSTÎTUYA KURDÎ YA STENBOLÊ

# FERHENGA KURDÎ - TIRKÎ

Amadekar: Zana Farqînî



ENSTÎTUYA KURDÎ YA STENBOLÊ
İSTANBUL KÜRT ENSTİTÜSÜ

# FERHENGA KURDÎ - TIRKÎ



# KÜRTÇE - TÜRKÇE SÖZLÜK

*Zana Farqînî*



# Naverok
## İçindekiler

# PÊŞEK

**Filozofê mezin Ehmedê Xanî berî 300 salan wiha gotibû: *"Safî şemirand, vexwarî durdî/ Manendê durê lîsanê Kurdî / înaye nîzam û întizamê / kêşaye cefa ji boyê amê / da xelq nebêjitin ku Ekrad / bêmerîfet in, bêesl û binyad."* Wî, çawan ku pirsgirêkên Kurdan hê wê demê dîtibû wisan jî girîngiya zimên dîtibû. Ji ber vê yekê serê xwe ji bo zimên êşandibû. Boneya ku zarokên Kurdan bi ilm û îrfanê, Kurdî fêr bibin bi navê Nûbarê bingeha ferhenga Kurdî danîbû. Ehmedê Xanî zanibû ku hêmanên nasîna neteweyekê yek jî ziman e û yê bingehîn e. Ziman nasnameya neteweyan e. Berî her tiştî netewe bi zimanê xwe tên nasîn. Bêyî ziman, netewe taybetiyên xwe yên bingehîn winda dikin û nayên nasîn.**

**Heyîna gotin û peyvên neteweyekê gencîna wî ya zimên e. Ferheng îfadeya vê gencînê ye. Zimanên negihîştine asta nivîskî, di bin bandora ziman û çandên serdest de roj bi roj ji heyîna xwe tiştek winda dikin, qels dibin û dihelin. Zimanê neteweyên xwedî ferheng nikarin bên înkarkirin. Ferheng, çavkaniya gotin û peyvên zimanê nivîskî yê razber e. Wekî çand, huner, wêje û hwd. gava tî dibin ji kaniya ferhengê pêdiviyên xwe pêk tînin; geş û fireh dibin.**

**Ew kesên ku di serî de dest avêtine karê ferhengê ev rastî û girîngiya wê dîtine. Loma jî îro ferhengnasî wek zanisteke serbixwe, xwe daye pejirandin. Her netewe û gelên ku ev pêwistî dîtine ji bo ferhengçêkirinê sazî ava kirine, xebat dane meşandin û li ser vê xebatê hûr û kûr bûne.**

**Îro zimanê Kurdî di bin mercên dijwar de xwe diparêze. Li ser zimên çi qas qedexe, çewisandin û dijwariyên din hene, tên zanîn. Ligel pirbûna zaravan û**

# SUNU

Büyük filozof Ehmedê Xanî 300 yıl önce şöyle demişti: *"Duruyu bir yana itip içti tortuyu\ İnci gibi olan Kürt dilini \ Düzene koydu, intizama getirdi \ Böylece amme için çekti cefa \ Ki el demesin Kürtler \ İrfansız asılsız ve temelsizdirler."*

Ehmedê Xanî daha o dönemde Kürtlerin önemli sorununu gördü ve dilin önemine dikkat çekti. Bu nedenle dil üzerine kafa yordu. Kürt çocuklarının ilim ve irfanla Kürtçeyi öğrenmeleri için Nûbar adıyla Kürtçe sözlüğün temelini attı. Ehmedê Xanî bir ulusu vareden temel unsurlardan birinin de dil olduğunu biliyordu. Dil ulusların kimliğidir. Her şeyden önce, ulus diliyle tanınır. Dilini kaybeden bir ulus temel özelliğini kaybetmiş sayılır.

Bir ulusun söz varlığı dilin hazinesidir. Sözlük bu hazinenin ifadesidir. Yazılı düzeye ulaşmayan diller,egemen dil ve kültürlerin etkisi altında gün be gün varlıklarından bir parça kaybeder, zayıflar ve erirler. Sözlük sahibi uluslar inkar edilemezler. Sözlük yazılı dilin söz varlığının en somut kaynağıdır. Kültür, sanat ve edebiyat susadığında sözlük pınarından beslenir, ihtiyaçlarını giderir; gürleşir ve genişler.

Daha başta sözlük işine el atanlar, bu gerçeği ve önemini görmüşlerdir. Bu nedenle bu gün sözlük bilimi ayrı bir bilim dalı olarak kendini kabul ettirmiştir. Bunu bir gereksinim olarak gören her ulus ve halk sözlük yapmak için kurum oluşturmuş, çalışmalar yürütmüş ve bu çalışmalar üzerine yoğunlaşıp, derinleşmişlerdir.

Bu gün Kürt dili çetin koşullar altında kendini korumaya çalışıyor. Kürt Diline yönelik uygulanan baskı-yasaklar ve Kürt dilinin içinde bulunduğu zorluklar bilini-

**devokan, zimanê Kurdî di nav aloziyekê de ye. Ev şert û merc nahêlin ziman bi peş ve biçe, bibe zimanekî hevgirtî û yekgirtî. Pêwîstî bi berhemên wisan heye ku xizmeta hevgirtin û yekgirtina zimanê Kurdî bike. Yek ji van berheman jî ferheng e.**

**Ji ber mercên ku Kurd tê de dijîn, loma jî di qada ferhengê de mixabin em dereng mabûn. Diviya bû ku Kurdan di her qadê de hewl û hêz bidana xwe ku astengên dijwar û kambax ji holê rakirina û riya xwe vekirina. Bi rastî Kurdên ku di vê qadê de dixebitin, ji van astengên han ên dijwar gelek ji ber xwe rakirin û berhemên hêja afirandin. Em ji afirendêrên van berheman re spasdar in.**

**Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê piştî çapkirina Ferhenga Tirkî - Kurdî, amadekirina Ferhenga Kurdî - Tirkî hilda programa xwe. Ji bo pêkanîna vê xebatê bi her awayî piştgiriya Zana Farqînî kir. Ev ferhenga di destê we de bi piştgiriya Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê û bi keda Zana Farqînî derketiye holê. Em ji Zana Farqînî re dibêjin mala te ava û dest û pêçiyên te ter bin.**

**Îro em bi mîzgînî dibêjin ferhenga Kurdî - Tirkî ya mezin va ye di destê we bikarhêneran de ye. Em bawer in ku her Kurdek ji ber vê ferhenga Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê şanaz û serbilind e.**

**Ji sedemên ku me di ferhenga yekem de diyar kiribû, ferhenga Tirkî - Kurdî derket. Lê ya herî girîng ferhenga Kurdî - Tirkî bû. Ev qada vala, diviyabû ku bê tijekirin. Bi vê ferhengê, ev valayî ji holê rabû.**

**Di vê ferhengê de heyîna gotin û peyvan, hêza zimanê Kurdî dide ber çavan. Civak çawan li jiyanê û li dinyayê dinihêre, nirx û toreyê wê çi ne, çawan xwe radigihîne hev; keser, êş, coş û kêfxweşiyên wê çi ne, radixe holê. Ji bilî peyvan, wek nimûne bi deh hezaran biwêj di vê ferhengê de cih girtine. Di**

yor. Eğitim ve öğretim dili olarak kullanılmadığı için Kürtçe'de birçok lehçe ve şive varlığını sürdürüyor. Bu da Kürt dilini bir karmaşaya sürüklüyor. Bu koşullar dilin gelişmesini, birleşik ve standart bir dil olmasını engelliyor. Dilin birleşik ve standart hale gelmesine hizmet edecek eserlere gereksinim vardır. Bu eserlerden biri de sözlüktür.

Kürtler, içinde yaşadıkları koşullar nedeniyle ne yazık ki sözlük yaratma konusunda geç kalmışlardır. Ancak mevcut durumu aşmak ve ihtiyaca cevap vermek üzere çaba ve emek sahibi kurum ve şahısların varlığı sevindiricidir. Bu alanda faaliyet gösteren, zor engellerin bir çoğunu ortadan kaldırıp, değerli eserler yaratanlara müteşşekkiriz.

İstanbul Kürt Enstitüsü, Türkçe - Kürtçe Sözlüğün yayımlanmasından sonra Kürtçe - Türkçe Sözlüğü programına aldı ve çalışmanın tamamlanması için Zana Farqînî'ye gerekli olan maddi desteği sağladı.

Elinizdeki bu çalışma İstanbul Kürt Enstitüsü'nün yardımı ve Zana Farqînî'nin değerli emeği ile ortaya çıkmıştır.

Değerli emeğinden dolayı Farqînî'ye teşekkür ediyor ve ellerine sağlık diyoruz.

Kürt diline olduğu kadar Türkçe'ye de katkı sunduğuna inandığımız bu çalışmanın yayımlanmasında ve sizlerin istifadesine sunulmasından büyük bir mutluluk duyuyoruz. Kürt diline ve kültürüne sahip çıkan herkesin bu çalışmadan gurur ve memnuniyet duyacağına inanıyoruz.

Elinizdeki bu sözlükle büyük bir boşluk doldurulmuş oldu.

Bu sözlükteki söz varlığı Kürt dilinin zenginliğini ortaya koyuyor. Kürt toplumunun nasıl yaşadığını, nasıl dünyaya baktığını, değer ve geleneklerinin ne olduğunu, kendisini nasıl birbirine ulaştırdığını, keder, acı, coşku, sevinçlerinin ne olduğunu göz önüne seriyor. Sözlükte, sözcüklerin yanı sıra binlerce deyim var.

**heman demê de peyv û têgînên nû yên ku hewcedariya me bi wan hebûn, dîsan di ferhengê de em rastî wan tên ku bi piranî ji zarava Kurmanciya jêr (Soranî) hatine girtin. Bi vê yekê zaravayên Kurdî nêzî hev dibin û termînolojiyeke hevgirtî çêdibe. Ev yek herêman radigihîne hev, ji hev agahdar dike lê ranaweste; riya çand, huner û wêjeya nûjen vedike. Ev vejîna zimên e. Ziman vejîna giyan û nasnameya gel e.**

**Peyvên ku di ferhengê de cih girtine, her yek ji wan di nava jiyana me de bi serê xwe bûn. Hinek jî di quncên tarî de hatibûn jibîrkirin, belkî di demeke dirêj de winda bibûna. Lê bi lêkolîn, berhevkirin û xebatên bi vî rengî hatin cem hev, kom bûn û li ser kaxiz bûn ferheng. Ji wan hêza zimên derket holê. Heke ev hêz, ligel vê ferhengê bikeve zimanê nivîskî û yê rojane dê rist û xizmeteke mezin bîne cih. Ew peywira me tevan e.**

**Berî vê ferhengê hinek ferhengên Kurdî - Tirkî hatibûn amadekirin. Lê ev ferheng ji wan hemû ferhengan mezintir, dorfirehtir û dewlementir e. Di serî de Kurd, her kesên ku bixwazin Kurdî hîn bibin, jê sûd wergirin û sînorê hêza zimanê Kurdî binasin, ji bo wan çavkaniyeke bingehîn e.**

**Kedeke hêja di nav her peyveke vê ferhengê de heye. Em dikarin bi dilrihetî bibêjin ku ji lêkolîn û berhevkirina peyvan, ji xebata amadekirinê heta serastkirina wê metoda zanistî pêk hatiye.**

**Pêşiyê ferhengdanerê Kurdan Ehmedê Xanî ye. Bi amadekirina vê ferhengê em bawer in ku Ehmedê Xanî di gora xwe de, dê bêhtir bihizûr be.**

**Di her berhemên zanistî de jî kêmasî çêdibin. Em ji nirxandin û rexneyan re vekirî ne. Heke bikarhênerên ferhengê kêmasî û şaşiyên wê bibînin, daxwaza me ew e ku rexneyên xwe ji Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê re bi nivîskî bişînin. Dîtin û rexneyên we ji bo çap û xebatên din dê alîkar bin û hêz bidin me**

Çoğu Aşağı Kurmanci'den alınan ve ihtiyaç duyduğumuz yeni sözcük ve kavramlar yer alıyor. Böylece Kürtçe'nin lehçeleri yakınlaşıyor, birkleşik bir terminoloji oluşuyor. Bölgeleri birbirine ulaştırıp, haberdar ediyor fakat onunla kalmayıp; çağdaş kültür, sanat ve edebiyatn yolunu açıyor. Bu dilin dirilişidir. Dil ruh ve kimliğin dirilişidir.

Sözlükte yer alan sözcüklerin her biri yaşamımızda kendi başına idi. Bazıları ise karanlık köşelerde unutulmuştu, belki de uzun bir zaman sonra kaybolacaktı. Fakat araştırma, derleme ve buna benzer çalışmalarla bir araya geldiler, toparlandılar ve kağıt üzerinde sözlüğe dönüştüler. Onlarla dilin gücü meydana çıktı. Eğer bu güç, yazılı ve günlük dilde kullanılırsa büyük bir rol ve hizmeti yerine getirecektir. Bu hepimizin görevedir.

Bu çalışmadan önce Kürtçe - Türkçe birçok sözlük hazırlandı. Fakat bu sözlük hepsinden daha büyük, kapsamlı ve zengindir. Başta Kürtler olmak üzere, Kürtçe öğrenmek, yararlanmak ve Kürt dilinin gücünün sınırlarını tanımak isteyen her kes için temel bir kaynaktır.

Her kelimesinde değerli bir emek vardır. Yine gönül rahatlığı ile söyleyebiliriz ki, sözcüklerin araştırılması ve derlenmesinden, hazırlık çalışmalarından tutalım redaksiyonuna kadar bilimsel bir yöntem takip edilmiştir.

Kürtçe sözlüğün öncüsü büyük filozof Ehmedê Xanî'dir. Bu sözlüğün hazırlanması ile inanıyoruz ki Ehmedê Xanî mezarında daha huzurlu olacaktır.

Her bilimsel eserde eksiklik ve hatalar olabilir. Biz değerlendirme ve eleştirilere açığız. Eğer sözlüğün kullanıcıları eksiklik ve yanlışları görürlerse, eleştirilerini Kürt Enstitüsüne yazılı olarak göndersinler. Görüş ve eleştirileriniz başka baskı ve çalışmalarda bize yardımcı olacak, güç verecektir.

**Estîtuya Kurdî ya Stenbolê bi vê baweriyê xebatên xwe kûr dike. Armanca me ew e ku em piştî vê xebatê, ferhenga Kurdî - Kurdî, ferhenga zaravayên Kurdî; di serî de jî ferhenga Kurmanckî (Zazakî) - Kurmancî, ferhenga biwêjan, ferhenga riwekan amade bikin. Ev xebatên dûvedirêj in, ji bo wan sebr û aram divê. Lê berî her tiştî alîkarî û piştgiriya we divê.**

**Heta ev xebat hate ber destê we pir astengî û dijwarî hatin kişandin. Hûn dizanin ku ji bo Kurdan kîjan sazî û kes hewl bide xwe ku tiştek bike, di serî de pêşiya wan tê girtin. Ev yek bi serê me de jî hat.**

**Di dema sererastkirin, rûpelsazî û çapkirina ferhengê de, pir kesan ked dan û ketin nav hewleke hêja. Ji bo vê yekê ji hemiyan re em spas dikin. Ji bo rûpelsazî ji Aysel Çetîn, ji bo serastkirinê ji Kerem Soylu û Yaşar Eroğlu, ji bo piştgiriya diravî ji birêz Feridun Çelik, ji birêz Mehmet Can Tekin, ji birêz Remzi Azizoğlu, ji birêz Hüseyin Kalkan, ji birêz Cabbar Leygara û ji birêz Cezayir Serin re em spasiyên xwe pêşkêş dikin.**

**Her wiha ji ber piştevaniyê em spasiya Serekkonsolosiya Holandayê ya Stenbolê jî dikin.**

**Ji aliyê programa Matra Kap a Serekkonsolosiya Holandayê ve piştgiriya vê ferhengê hatiye kirin.**

**Em bi dilşadî û bextewarî, ferhenga Kurdî - Tirkî diyarî gelê Kurd dikin.**

ENSTÎTUYA KURDÎ YA STENBOLÊ

İstanbul Kürt Enstitüsü bu inançla çalışmalarını derinleştiriyor. Bu sözlükten sonra programımızda başta Kurmancki (Zazaki) Kurmanci olmak üzere Kürtçe lehçeleri sözlüğü, Deyimler sözlüğü ve botanik sözlüğü vardır. Bunlar uzun erimli çalışmalardır ve sabır gerektirir. Her şeyden önce de yardım ve desteğinize ihtiyaç vardır. Bu desteğinizi bizden esirgemiyeceğinize inanıyoruz.

Bu çalışma elinize geçinceye kadar bir çok engel ve güçlüklerle karşılaşıldı. Bilindiği gibi Kürtler için kim bir şey yapmaya kalkışırsa daha başta önü kesilir. Bu durum bizim de başımıza geldi.

Bu eserin hazırlanmasında birçok kişinin emeği vardır. Bu nedenle hepsine teşekkür ediyoruz. Özellikle mizanpajdan dolayı Aysel Çetin'e, redaksiyondan dolayı Kerem Soylu ve Yaşar Eroğlu'na, maddi desteklerinden dolayı sayın Feridun Çelik'e, sayın Mehmet Can Tekin'e, sayın Remzi Azizoğlu'na, sayın Hüseyin Kalkan'a, sayın Cabbar Leygara'ya ve sayın Cezayir Serin'e teşekkürlerimizi sunuyoruz.

Ayrıca desteklerinden dolayı Hollanda'nın İstanbul Başkonsolosluğuna teşekkür ediyoruz. Bu sözlük Hollanda Başkonsolosluğu, Matra Kap programı tarafından desteklenmiştir.

Sevinç ve mutlulukla Kürtçe - Türkçe sözlüğü siz sevgili okuyucularımıza sunuyoruz.

İSTANBUL KÜRT ENSTİTÜSÜ

# Pêşgotin

**Piştî xebateke dûr û dirêj û ew çend jî dijwar, min ev xebata xwe ya Ferhenga Kurdî - Tirkî jî bire serî. Ji ber vê yekê ez pir şad im. Çimkî, piştî amadekirina ferhenga Tirkî - Kurdî, îcar bi Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê re me amadekirina ferhenga Kurdî - Tirkî wek armanc danîbû ber xwe. Ev e, em gihîştin vê mebest û armanca xwe, ji lew re jî ez bi temamkirina vê ferhengê, gelek şad û bextewer im.**

**Bi rastî karê çêkirina ferhengan pir zor e. Îcar zorahiya vî karî li aliyê din, lomeyên wê jî zehf in. Tu çi bikî, tu nikarî dilê her kesî xweş bikî. Bi vê zanebûnê, min xwe li vî karî qirase kir. Biryara serketîbûn an jî serneketîbûna vê xebatê, ez ji kesê pisporê vî karî re dihêlim, teqdîr a wan e.**

**Beriya her tiştî ev ferhengeke du zimanî ye. Bi gotineke din, ferhenga Kurdî - Tirkî ye. Ev, taybetiya vê ferhengê ye û bi vê azînê hatiye çêkirin. Heta ji dest min hatiye, ez lê xebitîme ku li hemberî peyvên Kurdî ligel hemû wateyên wan û bi awayekî rast, Tirkiya wan deynim. Bi vê yekê jî min qîma xwe neanî, min berdewamiyên peyvên Kurdî jî nivîsandin û bergindên wan ên Tirkî jî dan. Ji bo ku peyv baş bên têgihîştin û mijar ronî bibin, min hevokên nimûneyî jî dan.**

# Önsöz

Uzun ve bir o kadar da çetin bir çalışma sonucunda Kürtçe - Türkçe sözlük çalışmamı tamamlayabildim. Bundan dolayı çok mutluyum. Çünkü, Türkçe - Kürtçe sözlük çalışmasından sonra İstanbul Kürt Enstitüsü ile birlikte bu kez Kürtçe - Türkçe sözlük çalışmasını bir hedef olarak önümüze koyduk. İşte bu hedefimize ulaştığımız ve bu sözlüğü de bitirebildiğimiz için mutluyum.

Gerçekten, sözlük çalışmaları çok zordur. Bu işin zorluğu bir yana, bu tür çalışmaların sitem ve serzenişleri de fazla. Ne yaparsan yap, herkesi memnun etmen mümkün değil. Ben bunun bilinciyle bu çalışmaya da başladım. O yüzden bu çalışmanın başarılı veya başarısız oluşunu işin ehline bırakmak istiyorum, takdir artık onlarındır.

Herşeyden önce bu iki dilli bir sözlüktür. Diğer bir deyişle, Kürtçe - Türkçe sözlüğüdür. Sözlüğün bu özelliği dikkate alınarak hazırlanmıştır. Elimden geldiğince, Kürtçe kelimelerin bütün Türkçe karşılıklarını doğru bir biçimde vermeye çalıştım. Sadece bununla da yetinmedim, madde başı Kürtçe sözcüklerin madde sonlarına da yer verdim. Kelimeler net ve iyi anlaşılsın diye, örnek cümleleri vermeyi de uygun gördüm.

Bu sözlük, yıllarca süren bir çalış-

**Ev ferhenga li ber dest, encama kedeke xebata bi salan e. Her çendî piştî derketina ferhenga Tirkî - Kurdî, ku di Pûşpera 2000'î de derket, min dest bi xebata amadekirina vê ferhengê kiribe jî, kar û barên ji bo çêkirina vê ferhengê, hê pir ji berê ve ye.**

**Bi kurtasî, di encama lêkolîn û lêgerînên min ên ku bi salan ajotin û di dawiya xebata çar salan de ev ferheng ji çapkirinê re amade bû. Çar salên bi şev û roj û neşikandî.**

**Min divê ku ez hinek der barê naveroka ferhengê de jî tiştinan bibêjim. Di ferhengê de 131 hezar û 266 peyvên Kurdî û 35 hezar jî berdewamiya van peyvan cih digirin. Ev 35 hezarê hanê jî, dewama serê madeyê ne, ku ji lêkerên alîkar, biwêj û hwd. pêk tên. Li aliyê din, dixwazim bidim xuyakirin ku, nêzî 6 hezar pevy û bêje jî li ber destê min man û min ew di ferhengê de bi kar neanîn. Sedem jî ev bû, ji ber ku min başebaş mane û wateyên wan nizanibû, loma min dest neda wan.**

**Li aliyê din, divê bê gotin ku, kapasîteya zimanê Kurdî ne ev e. Jixwe angaşt ango îdiayeke me ya wisan tune ku em bibêjin hemû peyvên zimanê me di vê ferhengê de bi cih bûne. Heta ku di rewşên bikeys û azad de, lêkolîn û vekolînên berhemên me yên nivîskî, berhevkirina zargotina me û lêgerînên qadî û meydanî çênebin, gencîneya zimanê me tam dernakeve rastê. Bi awayekî giştî, bi hêsanî em dikarin bibêjin ku em hîna ji kirina van xebatan bêpar in. Ji ber ku di van waran de pir kêm xebat hatine kirin. A di van mercên giran de, me karî ew qas peyv berhev bikin û di ferhengê de bi cih bikin.**

manın, bir emeğin sonucudur. Her ne kadar Türkçe - Kürtçe sözlüğün çıkmasından sonra, ki bu sözlük 2000 Haziran'ında çıktı, ben bu sözlüğü hazırlamaya koyulmuşsam da, aslında çalışmalarım çok daha eskilere dayanıyor.

Kısaca, yıllarca süren araştırma ve derleme çalışmalarımın ile dört yıl geceli gündüzlü bir şekilde süren bir çalışma sonucundan sonra bu sözlük basıma hazır hale gelebildi.

Sözlüğün içeriği hakkında da birkaç söz söylemek istiyorum. Sözlükte 131 bin 266 Kürtçe sözcük ve 35 bin de bu kelimelerin devamları yer almakta. Bu 35 bin de, sözcüklerin madde sonu ve deyimlerden oluşmakta. Diğer tarafta, 6 bine yakın kelimeye de sözlükte yer vermedim. Bu sözcüklerin gerçek anlamları hakkında yeterli ve kesin bir bilgiye sahip olmadığım için, böyle bir yola baş vurmayı uygun gördüm.

Kürt dilinin kapasitesinin bu olmadığını belirtmem gerekiyor. Zaten böyle bir iddiamız yok ve bu sözlük Kürtçedeki bütün kelimeleri de içermemektedir. Uygun ve özgür koşullarda Kürtçe yazılı eserler ve sözlü edebiyat üzerine yeterli araştırmalar ile alan araştırmaları yapılmadığı müddetçe, Kürtçenin zenginliğinden bahsetmek mümkün değil. Genel olarak, diyebiliriz ki, biz daha bu tür çalışmalardan yoksunuz. Çünkü, gerçekten, bu alanlarla ilgili araştırmalar son derece azdır. İşte biz böylesi şartlarda ancak bu kadar kelimeyi bu sözlükte biraraya getirebildik.

Bununla beraber, bu alanlarla ilgili çalışmaların azlığından dolayı, gücümüz yettiğince ve olanaklarımız el verdiği

**Lê belê, ji ber kêmbûna xebatên li ser van waran, ku me li jor ji wan behs kir, heta ji me hatiye û derfetên me dest dane, em lê xebitîne ku em hinek kêmasiyên xwe kêmtir bikin. Hem beriya dema amadekirina ferhenga Tirkî - Kurdî û hem jî di dema ferhenga Kurdî - Tirkî de min bi xwe, gelek berhemên nivîskî, bêyî ku ez li cureyên wan binêrim, tev dane, vekolandine û min ji wan peyv û biwêj berhev kirine. Vekolîn û lêgerînên min ên der barê berhevkirina peyvan de, ku ji ber vê yekê navê 'nêçîrvanê peyvan' li min hatiye danîn, heta destpêka salên 1980'î diçin.**

**Ji ber ku ez van her du ferhengan ango xebata xwe ya pêşîn Ferhenga Tirkî - Kurdî û Ferhenga xwe ya dawî Kurdî - Tirkî, ne ji hev cihê lê belê wan wek berdewamiya hev dibînim. Jixwe bêyî ku navber bikeve nav wan, min ev xebat pêk anîne. Loma jî der barê awayê berhevkirin û lêkolîna li ser çavkaniyan, jixwe min bi awayekî berfireh û aşkera di ferhenga xwe ya Tirkî - Kurdî de, dabû xuyakirin. Bi kurtasî berhemên ku min ji wan sûd wergirtine, yeko yeko ne gengaz e ku ez li vir navên wan tevan aşkera bikim. Lê, berhemên ku diviya wek çavkanî me ew hildane dest, jixwe di beşa çavkaniyan de hatine diyarkirin.**

**Di warê rastnivîsa hin peyvên Kurdî de astengiyên me çêbûn. Wek tê zanîn, di warê rastnivîsê de zimanê me yê nivîskî hîna tam baş rûneniştiye. Bandora zimanê devkî, ku herêm herêm xwedî cudahiyan e û aşkera ye ku pîvaneyeke hevgirtî di zimanê devkî de tune ye, li ser zimanê me yê nivîskî heye. Ji ber vê yekê, em neçar man ku em cih bidin hemû awayên peyvê. Lê belê, digel vê yekê, me ji nav**

ölçüde, bu alanların eksikliğini gidermeye çalıştık. Hem Türkçe - Kürtçe sözlükten önce ve hem de Kürtçe - Türkçe sözlüğü hazırlama aşamasında, türlerine bakmaksızın bir sürü Kürtçe yazılı eseri okuyup inceledim ve onlardan kelime ile deyim derledim. Kelime derlemem ve onların anlamları hakkındaki çalışmalarım, ki bundan dolayı 'kelime avcısı' lakabı bana takıldı, 1980'li yılların başlarına kadar gitmekte.

Bu iki sözlüğü yani ilk çalışmam olan Türkçe - Kürtçe sözlük ile son çalışmam olan Kürtçe - Türkçe sözlüğü birbirinden ayrı olarak değil bir birinin devamı olarak görüyorum. Zaten aralarına zaman girmeden ben bu çalışmalarımı tamamladım. İşte bundan dolayı, ilk sözlükte, önsüzde kelime derleme ve kaynaçalar üzerindeki araştırmaların hakkında yeterli bilgiyi vermiştim. Kısaca, yararlandığım bütün eserleri burada teker teker adlarını zikrederek açıklamam mümkün değil. Ama kaynakça olarak belirtmem gereken eserleri zaten kaynakça bölümünde gösterdim.

Bazı Kürtçe sözcüklerin imlâları konusunda birtakım sıkıntılarımız oldu. Bilindiği üzere Kürtçe yazı dilinde yazım kuralları tam anlamıyla oturmamıştır. Bölge bölge farklılık arzeden ve bir standarda sahip olmayan konuşma dilinin etkisi, hâlâ yazı dilimiz üzerinde etkilidir. Bu durumdan ötürü bazı sözcüklerin birden fazla telaffuz biçimine yer vermek durumunda kaldık. Fakat, bunu yaparken, içlerinden yazı dilinde en fazla tercih edilenini esas aldık. Diğerlerini de bnr (bakınız) kısaltmasıyla sözlük kullanıcılarını tercih edilen kelimeye yönlendirdik. Bu tercihi yaparken de, dil

**wan şêweyan hebek bijart ku bi piranî di zimanê me yê nivîskî de êdî cihê xwe girtiye. Bi kurtebêjeya *bnr* me berê bikarhênerên ferhengê da şêweya peyvê ya hilbijartî. Gava me ev yek kir jî, me rêbazên zimannasiyê ji xwe re hîm û rêber girtin. Nemaze ew peyvên hevedudanî û yên ku di wan de guherîna dengan çêbûne, ji aliyê peyvnasî û şêwenasiyê ve hatine vekolandin û awayên wan ên rast hatine tercîhkirin.**

**Piştî daxuyandina van gotinan, li ser navê ferhengê jî hewce ye ku ez çend gotinan bibêjim. Her çi qas navê ferhengê, ferhenga Kurdî - Tirkî ye jî, lê ya rast di şûna Kurmancî de, me peyva Kurdî tercîh kir. Ji ber ku piraniya Kurdan bi zaravayê Kurmancî diaxivin û di şûna Kurmancî de bikaranîna peyva Kurdî bi taybetî di warê ferhengan de bûye kevneşopeke jêneger.**

**Ev peyvên ku di vê ferhengê de cih girtine, peyvên zaravayê Kurdî yê herî mezin ên Kurmancî ne. Loma ev ferheng di rastiya xwe de, ferhenga Kurmancî - Tirkî ye. Ev yek wiha bê zanîn dê baş be. Lê belê divê ku ez tiştekî aşkera bikim. Nemaze di van deh-pazdeh salên dawî de, gelek peyvên zaravayên Kurmanciya naverast (Soranî) ketin nav Kurmanciya nivîskî, ku pêwîstî bi wan peyvên nû hebûn. Bi taybetî wek peyvên zanistî, rêveberî, hiqûqî, siyasî, wêjeyî û hwd. Me di vê xebata xwe de cih da wan peyvan jî. Lê hewce bi dubarekirinê heye, ev ferheng, ferhenga zaravayê Kurmancî ye.**

**Malavayî**

**Di heng û heyama amadekirina vê ferhengê de, gelek kesan peyvên ku ji**

bilim metodunu kendimize rehber edindik. Özellikle de bileşik kelimeleri ve bünyesinde ses değişimleri yaşanmış sözcükleri etimolojik ve morfolojik yönleriyle ele alıp inceledikten sonra en doğru formunu tercih ettik.

Bu açıklamalardan sonra sözlüğün ismi üzerine de birkaç söz söylemek istiyorum. Her ne kadar sözlüğün ismi Ferhenga Kurdî - Tirkî (Kürtçe - Türkçe sözlük) ise de, aslında biz 'Kurmancî' sözcüğün yerine 'Kurdî' sözcüğünü tercih ettik. Çünkü Kürtlerin büyük bir çoğunluğu Kürtçenin Kurmancî lehçesini konuşurlar ve Kurmanci kelimesi yerine Kurdî kelimesinin kullanılması, özelikle sözlük alanında nerdeyse şaşmaz bir gelenektir.

Bu sözlükte yer alan kelimeler, Kürtçenin en büyük lehçesi olan Kurmancî lehçesinin sözcükleridir. O yüzden, aslında bu Kurmancî - Türkçe olan bir sözlüktür. Bunun bilinmesinde fayda vardır. Fakat bir şeyi açıklamam gerekiyor. Özellikle bu son on-on beş yılda, Kürtçenin diğer şivesi olan Orta Kürtçeden (Soraniceden) Kurmancî lehçesinin yazı diline ihtiyaç duyulan bir sürü yeni sözcük girdi. Bilhassa bu sözcükler daha çok bilimsel, hukukî, îdarî, siyasî ve edebî gibi alanlara ait kelimelerdir. İşte bu sözlük çalışmamızda bu tür kelimelere de yer verdik. Tekrarlamakta fayda var, bu Kurmancî lehçesinin sözlüğüdür.

**Teşekkür**

Sözlüğün hazırlık aşamasında birçok kişi, kendi yörelerinden derlemiş oldukları sözcükleri bana gönderdi. Bu kişilerin adlarını belirterek teşekkürlerimi

**herêmên xwe berhev kirine, ji min re şandin. Dixwazim navên wan kesan bidim xuyakirin û spasiyên xwe pêşkêşî wan bikim:**

**Xemgîn/Zara, Yücel Atalay/Îdir, Seyda Goyan/ Şirnex, A. Vahap Karaaslan, Mehmet Kömür/Elbistan, Evdile Koçer/Dihê, Ehmedê Neco/ Mêrdîn, Mazlum Dogan/Elbîstan, Besa Mala Hesenê Kalê/ Elbistan, Aqîde Arslan, Cebbar Barış/Şêrwan û Mele Nûriyê Hesarî/ Qamişlo.**

**Her wiha spas ji bo Kerem Soylu, ku ferhenga Ali Seydo Gewranî ya bi navê 'Ferhenga Kurdî Nûjen' ku bi Kurdî - Erebî ye û xebata Ezîz Reşîd Akreyî ya bi navê 'Rêbera Sê Zimanî' ku bi Kurdî, Erebî û Îngilîzî ye, ji bo min vekolandin û peyv ji wan deranîn. Dîsa spasiya Şefik Beyaz dikim, ku xebata xwe ya ferhenga Kurdî - Tirkî da min da ku ez jê sûd û havil bigirim.**

**Li aliyê din, min divê ez spasiya wan hevalên xwe bikim ku em bi hev re di desteya rêveberiya Enstîtuyê de bûn û me bi hev re biryara amadekirina vê ferhengê dabû. Di serî de rehmetî Feqî Huseyn Sağnıç, Hasan Kaya, Kerem Soylu, Mülazım Özcan û Eşref Doğaner, ji bo we tevan dibêjim mala we ava.**

**Wekî din, min divê ez spasiya hin dost û hevalên xwe yên hêja bikim ku hem ji alî darayî û hem jî, ji aliyê manevî ve tim ji min re bûn alîkar. H. Mem, H. Başer, İbrahim Gürbüz, Mehmet Aktı, M. Şafi Ekinci û pismamê min Nezmî, zor spas û mala we ava.**

**Di bin vê sernavê de wek gotina dawî dixwazim ji dil û can spasiya hevsera xwe ya delal Siltanê, diya Ronî û Rojan bikim ku me bi hev re gelek tengî û firehî, tehl û şîrîn ên jiyanê dîtine.**

sunmak istiyorum:

Xemgîn/Zara, Yücel Atalay/Iğdır, Seyda Goyan/ Şırnak, A. Vahap Karaaslan, Mehmet Kömür/Elbistan, Evdile Koçer/Eruh, Ehmedê Neco/Mardin, Mazlum Dogan/Elbistan, Besa Mala Hesenê Kalê / Elbistan, Akîde Arslan, Cebbar Barış/Şirvan û Mele Nûriyê Hesarî/ Kamışlı.

Diğer taraftan Kerem Soylu'ya, Ali Seydo Gewranî'nin Kürtçe - Arapça 'Ferhenga Kurdî Nûjen' adlı sözlüğü ile Ezîz Reşîd Akreyî'nin Kürtçe, Arapça ve İngilizce olarak hazırlamış olduğu 'Rêbera Sê Zimanî' (Üç Dilin Rehberi) adlı eserini benim için tarayıp kelime derlediği için teşekkür etmek gerekiyor. Yine Şefik Beyaz'a da bana yararlanmam için kendi Kürtçe - Türkçe kelime çalışmasını verdiği için teşekkürlerimi sunuyorum.

Öte yanda, beraber Enstitü Yönetim Kurulu'nda çalıştığım ve birlikte bu sözlüğün hazırlanması için karar aldığımız arkadaşlarıma, başta merhum Feqî Huseyn Sağnıç'a, Hasan Kaya'ya, Kerem Soylu'ya, Mülazım Özcan'a ve Eşref Doğaner'e de teşekkür etmek istiyorum.

Ayrıyetten, bazı değerli dost ve arkadaşlarım da bana hem maddî hem de manevî olarak hep destek oldular: H. Mem, H. Başer, İbrahim Gürbüz, Mehmet Aktı, M. Şafi Ekinci ve amcazadem Nazmı, sizlere de sonsuz teşekkürler.

Bu başlık altında son söz olarak ta, sevgili eşim ve Ronî ile Rojan'ın anneleri Sultan'a canı gönülden teşekkürlerimi belirtmek istiyorum, o da benimle birlikte birçok sıkıntı çekti, hep birlikte acı tatlı günler gördük.

**Gotina Dawî**

**Em spasdarên wan kesan in ku di warê vî zimanê dêrin, şîrîn û tehdedîtî de ked dane û xebatan ji bo nifşên nû kirine. Bi saya xebatên wan îro em dikarin ferhengên wiha amade bikin û pê şanaz bibin. Mala we jî ava ey kesên ku ji bo zimanê Kurdî xem xwarine, zend û bend badane, dest birine xwe û xebat kirine.**

**Zana Farqînî**
**Stenbol, 19. 03. 2004**

**Son söz**

Bu kadim ve baskı görmüş şirin dil için emek vermiş, yeni kuşaklar için çalışmalar yapmış olanlara minnettarız. Çünkü bugün onların bu çalışmaları sayesinde böylesi sözlükleri yapabiliyoruz. Kürt dili için kaygı duymuş, kolları sıvayıp bu alanda çalışmalar yapmış olanlara tekrar binlerce kez teşekkürler.

**Zana Farqînî**
**İstanbul, 19. 03. 2004**

# ÇAVKANÎ - KAYNAKÇA

**Ferheng** Sözlükler

**1.** Îzolî, D.; Ferhenga Kurdî-Tirkî, Tirkî -Kurdî, Weşanên Deng, Stenbul 1992

**2.** Torî, Ferheng Kurdî-Tirkî Türkçe-Kürtçe, Berfîn Yayınları, Çapa Duyemîn, Stenbol 1999

**3.** Farizov, I.O; Ferhenga Tirkî-Kurdî, Özge Yayınları, Enqere 1994

**4.** Türkçe-Kürtçe Sözlük, Sosyal Yayınları, Stenbol1992

**5.** Yusuf Ziyaeddin Paşa'nın El Hediyyetül Hamidiye'sinden Osmanlıca Türkçe Taraması, Prof. Saime İnal Savi, Elektronik İletişim Ajansı Yayınları, Ankara

**6.** Ferhengçe Kurdî - Osmanî, Osmanî Kurdî (??)

**7.** Saadallah, Salah; Ferhenga Îngilîzî-Kurdî ya Selahedîn, Weşanên Avesta, Stenbol 2000

**8.** Gewranî, Ali Seydo; Ferhenga Kurdî Nûjen (Kurdî - Erebî), Urdûn 1980

**Weşanên vedor** Süreli yayınlar

**1.** Hawar (di 15'ê gulana 1932'yan de li Şamê dest bi jiyana xwe ya weşanê kir û 57 hejmar derket. Ji hemû hejmarên wê sûd hatiye wergirtin -15 Mayıs 1932 yılında Şam'da yayın hayatına başlayan bu derginin 57 sayısı çıktı. Bütün sayılarından yararlanıldı.)

**2.** Ronahî (Ji hemû hejmarên vê kovara mehane sûd hatiye wergirtin ku paşkoya Hawarê ye û di 1'ê Avrêla 1942'yan de li Şamê dest bi jiyana weşanê kiriye û li ser hev 28 hejmarên wê derçûne - 1942 yılında Hawar dergisinin aylık eki olarak yayınlanan Ronahî'nin her 28 sayısından yararlanıldı.)

**3.** Roja Nû (rojnameya Hefteyî ku di 3'yê Gulana 1943'yan de li Bêrûdê derketiye û heta 13'ê Gulana 1946'an weşana xwe berdewam kiriye - Beyrut'ta haftalık olarak 3 Mayıs 1943 yılında yanınlanmaya başlanmış ve bu yanını 13 Mayıs 1946 yılına dek sürdürmüş.)

**4.** Welat (Ji gişt hejmarên vê rojnameya hefteyî ya bi Kurdî sûd hatiye wergirtin ku di 22'yê Reşemiya 1992'yan de li Stenbolê dest bi weşana xwe kir û tevî hev 115 hejmarên wê derketin - 22 Şubat 1992 tarihinde İstanbul'da yayımlanan haftalık Kürtçe gazetenin çıkan 115 sayısından yararlanıldı.)

**5.** Welatê Me (Ji hemû hejmarên vê rojnameya hefteyî ya bi Kurdî sûd û havil hatiye wergirtin, ku ev rojname li Stenbolê di 20'ê Sermaweza 1994'an de dest bi jiyana xwe ya weşanê û 46 hejmarên wê derçûn - 20 Kasım 1994 tarihinde İstanbul'da haftalık Kürtçe olarak yayınlanan bu gazetenin her 46 sayısından yararlanıldı.)

**6.** Azadiya Welat (Ji 220 hejmarên vê rojnameya hefteyî ya bi Kurdî sûd hatiye wergirtin ku di 21'ê Rêbendana 1996'an de dest bi jiyana xwe ya weşanê kir û hîna jî weşana wê didome - 21 Ocak 1996 yılında İstanbul'da haftalık Kürtçe olarak yayın hayatına başlayan ve halen yayını süren bu gazetenin 220 sayısından yayarlanıldı.)

**7.** Rewşen (Ji hemû hejmarên vê kovara mehane ya Navenda Çanda Mezopotamyayê sûd hatiye wergirtin, ku di 1'ê Reşemiya 1991ê de li Stenbolê dest bi jiyana xwe ya weşanê kir û tevî hev 23 hejmarên wê derçûne -1 Şubat 1991 yılında Mezopotamya Kültür Merkezi'nin aylık yayın organı olarak yayın hayatına başlayan bu derginin çıkan 23 sasıyından yararlanıldı.)

**8.** Kurmancî (Ji 25 hejmarên rojnameya taybetî ya Enstîtuya Kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî sûd hatiye girtin-

Paris Kürt Enstitüsü'nün Özel Kurmancî gazetesinin 25 sayısından yararlanıldı.)

**Pirtûk** Kitap

**1.** Bedir Xan, Emîr Celadet & Lescot, Roger; Kürtçe Dilbilgisi, Weşana Doz, Çapa Sêyemîn, Stenbol 1997

**2.** Bedir Xan, Kamuran, Kolay Kürtçe, Weşanên Doz, Çapa Duyemîn, Stenbol 1997

**3.** Sağnıç, Feqe Huseyn; Hêmana Rêzımanê Kurdi, Melsa Yayınları, Stenbol 1991

**4.** Sağnıç, Feqe Huseyn; Pêşeriya Hewısina Zmanê Kurdi (Kürtçe Öğrenme Metodu) 1, Melsa Yayınları, Stenbol 1990

**5.** Sağnıç, Feqe Huseyn; Pêşeriya Hewısina Zmanê Kurdi (Kürtçe Öğrenme Metodu) 2, Melsa Yayınları, Stenbol 1992

**6.** Karacadağ, Nurrettin; Zıman ê Kurdi (Kürt Dili) (weşana nivîskar bi xwe ye, yazarın kendi yayını)

**7.** Xanî, Ehmedê; Mem û Zîn, Hasat Yayınları, Çapa Sêyemîn, Stenbol 1990 (Wergera M. Emîn Bozarslan ku wî ferhengokek li dawiyê amade kiriye- M. Emin Bozarslan'ın çevirisi ve çevirmenin kitaba eklediği küçük sözlük)

**8.** Badıllı, Kemal; Türkçe İzahlı Kürtçe Grameri (Kürmançça Lehçesi), Med Yayınları, Stenbol 1992

**9.** Rizgar, Baran; Uygulamalı Kürtçe Dersleri (Dersên Kurdî), Çapxaneya Lithusphere pringtin Coperative, London 1993

**10.** Bender, Cemşîd; Kürt Mutfak Kültürü ve Kürt Yemekleri, Melsa Yayınları, Stenbol.1992 (ji navê xwarin û amrazên metbexê sûd hatiye wergirtin - yemek ve mutfak araç gereçlerin isimlerinden yararlanılmıştır.)

**11.** Sağnıç, Feqe Huseyn; Çîrokên Kurdî, Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 1999

**12.** Teyran, Feqiyê; Ey Avê Av û Şêxê Sen'anî, Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 1999

**13.** Ciwan, Mûrad; Ahmedê Xanî 'jiyan, berhem û bîr û baweriyên wî', Weşanên Doz, Stenbol 1997

**14.** Ciwan, Mûrad; Türkçe açıklamalı Kürtçe Dilbilgisi (Kurmanci Lehçesi), Weşanên Jîna Nû, Sweden 1991

**14.** Bali, A; Rêzımana Kurdi (Kürtçe Dilbilgisi, Türkçe açıklamalı), Alan Yayıncılık, Stenbol 1992

**15.** Dost, Jan: Kela Dimdimê, Melsa Yayınları, Stenbol 1991

**16.** Varlı, Abdullah; Quran a Pîroz û Arşa Wêye Bilind (Kur'an-i Kerim ve Kürtçe Meali), Çapa Yekemîn 1994 (weşana nivîskar bi xwe- yazarın kendi yayını)

**17.** Zêrevan, Arif; Bingehên Rastnivîsandina Kurdiyê (kurmancî), Weşanxana Nefel, Stockholm 1997

**18.** Tan, Sami; Waneyên Rêzimanê Kurmancî; Weşanên Welat, Stenbol 2000

**19.** Kızılkaya, Muhsin; Kayip Diwan, İletişim Yayınları, Stenbol 2000

**20.** Sadînî, M. Xalid; Feqiyê Teyran (jiyan, helbest û berhemên wî), Weşanên Nûbihar, Stenbol 2000

**21.** Siyahpûş (tîpguhêziya M. Reşit Irgat), Çend Xezel û Helbest, Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, Stenbol 1999

**22.** Hazim, Rojen; Zimanê Wêneyan, Weşanxaneya Xanî & Bateyî, Danimarka 2000

**23.** Akreyî, Ezîz Reşîd; Rêbera Sê Zimanî (Kurdî, Erebî, Îngilîzî),? 1980

**Nîşe:** *Ji ferhengok û nivîsên van berheman (weşanên vedor û pirtûk) sûd û kelk hatiye wergirtin.*

**Not:** *Bu eserlerin (süreli yayınlar ve kitapların) küçük sözlüklerinden yararlanılmıştır.*

# Der barê bikaranîna ferhengê de

Me divê ku em der barê vekîta zimanê Tirkî de çend gotinan bibêjin. Di warê vekît ango rastnivîsa zimanê Tirkî de jî alozî û gelş hene. Ji ber ku di vî warî de hevgirtinek tune ye, ligel ku rexne li rastnivîsa ferhenga Tirkî ya 'Türk Dil Kurumu'yê hene jî, me çapa wê ya sala 1988'an ji xwe re wek rêber hilbijart û me da ser şopa rastnivîsa vê saziyê. Ji lew re em dixwazin ku haya we bikarhênerên ferhengê ji vê yekê hebe.

Ji bilî vê daxuyaniyê, agahiyên li jêrê yên der barê bikaranîna ferhengê de, ji bo ku bi awayekî baş sûd û kelk jê bê wergirtin pêwîst in.

**1)** Hemû made li gor rêza alfabeyê hatine birêzkirin. Lê, hêmanên ku ji çend peyvan hatine pê û bi serenavekê dest pê dikin, li gorî peyvên ku piştî serenavekê tên, hatine birêzkirin. Ji lew re pêwîst e ku bikarhêner li peyva piştî serenavê binêre.

**2)** Me cureyên peyvan li pêşiya peyvên Kurdî danîn û me bi îtalîkan ew dan xuyakirin; nimûne:

**bav** *n* baba (li vir bi kurtebêja 'n'ê hatiye nîşandan ku peyva 'bav' di Kurdî de peyveke nêr e.)

**dê** *m* anne (bi kurtebêja 'm'yê jî hatiye nîşandan ku peyva 'dê' di Kurdî de peyveke mê ye)

**heval** *nd/nt* arkadaş (di zimanê me de ji bilî nêr û mêtiya bêjeyê, nêtariya wê jî heye. Bi gotineke din, heman peyv dikare hem nêr be û hem jî mê be, ji bo aşkerakirina vê rewşê me li pêşiya peyvên bi vî awayî '*nt*' danî. Bi vê kurtebêjê jî me ev peyv ji yên din cihê kirin.)

**3)** Lêkerên hevedudanî û yên biwêjî di rewşa navdêr de bi hev ve, lê gava ku wek lêker hatibin bikaranîn, ji hev cuda hatine nivîsandin. Ev yeka hanê, ji bo hemû cureyên lêkeran e. Nimûne:

# Sözlüğün kullanımı hakkında

Türkçe imlâ konusunda değişik görüşler olduğu için, eleştiriler olmasına rağmen Türk Dil Kurumu'nun 1988 baskılı Türkçe sözlüğünün, imlasını, Türkçe kelimeler için temel aldık. Sözlük kullanıcıların bundan haberdar olmalarını önemle vurguluyoruz.

Aşağıda, maddeler halinde verdiğimiz bilgiler kullanıcılar için gerekli bilgilerdir.

**1)** Bütün maddeler alfabetik sıraya göre yer almıştır. Ancak, bir özel adla başlayan ve birkaç sözcükten oluşan öğeler özel ad ya da adlardan sonra gelen ilk sözcüğe göre sıralanmıştır. Bundan ötürü kullanıcılar özel isimden sonraki sözcüğe bakmalılar.

**2)** Kelime türlerini Kürtçe kelimelerin sonlarına koyduk ve onları italiklerle belirttik:

**bav** *n* baba (burdaki italik olan 'n' kısaltması Kürtçe kelimenin eril olduğunu gösteriyor)

**dê** *m* anne (buradaki italik olan 'm' kısaltması Kürtçe sözcüğün dişil olduğunu gösteriyor)

**heval** *nd/nt* arkadaş (italik olarak verilen 'nd/nt', kelimenin isim olduğunu ve hem eril hem de dişil olarak kullanıldığını gösteriyor. Böylesi kelimelere biz Kürtçe'de 'nötr kelimeler' adını veriyoruz.

**3)** Bileşik fiiller ile deyim filler, isim halinde bitişik fiil halinde ise ayrı yazılmıştır:

**sorkirin** (ad olarak bitişik)

**sor kirin** (bileşik fiil olarak ayrı)

**sorkirin** (ji ber ku mîna navdêr hatiye bikaranîn bi hev ve hatiye nivîsandin)

**sor kirin** (wekî lêkereke hevedudanî ji hev cihê)

**lihevkirin** (wek navdêr bi hev ve)

**li hev kirin** (wekî lêkereke biwêjî ji hev cihê)

**4)** Ji bilî peyvê, me cih da berdewamên wê jî. Nimûne: **qul** delik **~ kirin** delmek

**5)** Piştî peyva Kurdî ya ku pê serê madeyê dom dikir me nîşaneka **~** di şûna wê de danî û bi peyv (an jî peyvên din) dewam kir. Wekî **birçî** aç **~ man** aç kalmak. Gava ku peyva piştî madeyê berdewama wê bû me nîşaneka (**~**) bi peyvê ve nivîsand. Wekî; **bav** baba **~ê ruhanî** manevî baba

**6)** Piştî peyva serê madeyê, di şûna hin peyvan de me nîşaneka (...) bi kar anî: **rastî (...) hatin** (biriyle veya bir şeyle) karşılaşmak, rastlaşmak

**7)** Gava ku bi pêrkîtên */bê-/* û */bi-/*yê rengdêr hatibin çêkirin, bi peyvê ve, lê çaxa ku bi wan hoker hatibin çêkirin, ji peyvê cuda hatine nivîsandin.

**8)** Di zimanê me de, hin peyv dikarin bi çend şêweyan bên bilêvkirin, ji ber ku hîna di ziman de standardeke baş çênebûye, loma me cih da hemû awayên wan ên jî dan: Wekî *pan/pehn, tat/teht, bêhn/bîn, mirov/meriv, loma/lewma, bêhtir/bêtir, bihost/bost*..... Lê ji nav wan, şêweya ku di zimanê nivîskî de herî tê bikaranîn me esas girtiye û yên din jî bi kurtebêja *bnr* bikarhêner aresteyî wê peyvê kiriye.

**9)** Me nîşaneka (*) di serê her hevoka nimûneyê de bi kar anî, ji bilî vê yekê me dîsa ev di serê peyva Kurdî ya ku di awayê kişandî de ye, da. Ji bo hevoka nûnûne: **nihêrtin** bakmak... * **li vir binêre** buraya bak, * **wan rojan ji bîr meke** o günleri unutma * **ca tu lê binêre!** bak bak!

**10)** Hin caran me ji bo berginda peyvên Kurdî, rewşa navdêrên Tirkî wekî -e, -de/da, -den/dan da xuyakirin. Ji bo nimûne: **jê xwestin** -den istemek

**lihevkirin** (ad olarak bitişik)

**li hev kirin** (deyim fiil olarak ayrı)

**4)** Madde başı sözcük dışında, madde başı sözcüğün devamı olan kelimelere de yer verdik: **qul** delik **~ kirin** delmek

**5)** Madde başının devamı olan kelimelerde, madde başı için '~' işaretini kullandık ve diğer kelimeleri ondan sonra yazdık: **birçî** aç **~ man** aç kalmak. Diğer taraftan madde başının devamı olup onunla bitişik olması gereken kelimeyi '~' işaretiyle bitişik yazdık: **bav** baba **~ê ruhanî** manevî baba

**6)** Madde başı kelimeden sonra bazı kelimerin yerine (...) işaretini kullandık: **rastî (...) hatin** (biriyle veya bir şeyle) karşılaşmak, rastlaşmak

**7)** Kürtçede /bê-/ ile /bi-/ önekiyle sıfatlar yapılmışsa bitişik, yok eğer zarf yapılmışsa ayrı yazılmıştır.

**8)** Kürtçede bir kelime birkaç şekilde telaffuz edilebilir. Dilimizde bazı kelimelerde tam anlamıyla standarta gidilmemiş olduğundan dolayı bütün formlarını verdik, örneğin; *pan/pehn/, tat/teht, bêhn/bîn, mirov/meriv, loma/lewma, bêhtir/bêtir, bihost/bost*... Fakat *bnr* kısaltmasıyla diğerlerini en fazla yazı dilinde tercih edilene yönlendirdik:

**9)** Her örnek cümlenin başında (*) işaretini kullandık. Bunun dışında aynı işareti, yine çekimli haldeki Kürtçe kelimelerin başında da kullandık: **nihêrtin** bakmak * **li vir binêre** bak buraya!, * **wan rojan ji bîr meke** o günleri unutma * **ca tu lê binêre!** bak bak!

**10)** bazı Kürtçe kelimelerin Türtçe karşılığı için Türkçedeki ismin -e, -de/da, -den/dan hallerini belirtik. Örnek: **jê xwestin** -den istemek

# KURTEBÊJA PEYVAN
# KISALTMALAR

| | |
|---|---|
| **ab** | aborî: ekonomi |
| **ant** | anatomî: anatomi |
| **ark** | arkeolojî: arkeoloji |
| **ast** | astronomî: astronomi |
| **az** | avahîsazî: mimarî |
| **b** | baneşan: ünlem |
| **biy** | biyolojî: biyoloji |
| **bj** | bijîşkî: tıp |
| **bnr** | binêre: bakınız |
| **bot** | botanîk: botanik |
| **bw** | biwêj: deyim |
| **bz** | bazirganî: ticaret |
| **c** | cînavk: zamir |
| **d** | daçek: edat |
| **der** | deryavanî: denizcilik |
| **dîr** | dîrok: tarih |
| **el** | elektrîk: elektrik |
| **erd** | erdnîgarî: coğrafi |
| **fel** | felsefe: felsefe |
| **fiz** | fizîk: fizik |
| **fizy** | fizyonomî: fizyonomi |
| **fot** | fotografkêşî: fotografçılık |
| **geo** | geometrî: geometri |
| **gh** | gerguhêz: geçişli |
| **g** | gîhanek: bağlaç |
| **he** | hewavanî: havacılık |
| **hiq** | hiqûqî: hukukî |
| **h** | hoker: zarf |
| **jeo** | jeolojî: jeoloji |
| **kîm** | kîmya: kimya |
| **l/bw** | lêkera biwêjî: deyim fiil |
| **l/gh** | lêkera gerguhêz: geçişli fiil |
| **l/lb** | lêkera lebatî: etken fiil |
| **l/ngh** | lêkera negerguhêz: geçişsiz fiil |
| **l/tb** | lêkera tebatî: edilgen fiil |
| **lb** | lebatî: etken |
| **l** | lêker: fiil |
| **Lşk** | leşkerî: askerî |
| **man** | mantik: mantik |
| **mat** | matematîk: matematik |
| **m** | mê: dişil |
| **mec** | mecazî: mecazî |
| **meteor** | meteor: meteor |
| **met** | meteor olojî: meteoroloji |
| **mîn** | mînerolojî: mineroloji |
| **mzk** | muzîk: müzik |
| **nd** | navdêr: isim |
| **nd/rd** | navdêr û rendêr: isim ve sıfat |
| **ngh** | negerguhêz: geçişsiz |
| **n** | nêr: eril |
| **nt** | nêtar: nötür (hem eril hem dişil) |
| **ol** | olî: dinsel |
| **ped** | pedegojî: pedegoji |
| **psî** | psîkolojî: psikoloji |
| **rd** | rengdêr: sıfat |
| **rz** | rêziman: dilbilgisi |
| **sn** | sînema: sinema |
| **sî** | siyasî: siyasî |
| **sos** | sosyolojî: sosyoloji |
| **sp** | spor: spor |
| **şn** | şano: tiyatro |
| **tb** | tebatî: edilgen |
| **tek** | tekınîk: teknik |
| **wj** | wêje: edebiyat |
| **zoo** | zoolojî: zooloji |

## *Diyarî*

***Ez vê ferhengê di kesatiya ferhengdanerê me yê pêşîn Ehmedê Xanî de, diyarî neviyên wî Celadet Bedirxan, Musa Anter, Feqî Huseyn Sagnıç û hemû xemxwerên zimanê Kurdî dikim.***

## *İthaf*

*Bu sözlüğü ilk sözlükçümüz olan Ehmedê Xanî'nin şahsında torunları Celadet Bedirxan, Musa Anter, Feqî Huseyn Sağnıç ve Kürtçe için gam çekenlere ithaf ediyorum.*

# A

**a, A** *m* **1.** Kürt alfabesinin ilk harfi olup ses bilimi bakımından uzun ve artçı ünlüleri gösterir, *a* şeklinde telafüz edilir **2.** *mzk* nota işaretlerini harflerle gösterme yönteminde *la* sesini bildirir

**a (I)** *b* **1.** a (şaşmayı bildirir) * **a tu lê, çi qas xweşik e** a bak ne de güzel * **a çi xweşik e!** a ne güzel! **2.** a a (şaşa kalma) **3.** *h* işte * **a ev kesê hanê** işte bu adam

**a (II)** *rz* **1.** belirli dişil tekil takısı * **hevala baş** iyi arkadaş **2.** dişil iye lik eki * **ev rojname, a min e** bu gazete benim **3.** -ki, ilgi eki (ya şeklinde de kullanılır) * **a êvarê** akşamki **4.** yönelme eki görevini yerine getirir * **bera min da,** beni kovdu * **qesta malê kir** eve gitmeye yeltendi

**a (III)** *rz* belirsiz dişil tekili gösterir ~ **baş (an jî çêtir)** 1) iyisi 2) iyisi mi ~ **baş (an jî çêtir) ew e ku** iyisi * **a baş ew e ku tu têkilî bi vî tiştî mekî** iyisi bu işe karışma ~ **ber mal û mêran bûn** 1) (kız) evlenme çağına gelmek 2) (kız veya kadın) evliliği yürütecek güçte olmak ~ **beyanî** sabahki ~ **(yekî) bi (yekî) man** ettiğiyle kalmak ~ **bi xêr ew e ku ez wî nebînim** (birini) gözüm görmesin ~ **(yekî) bi ya (yekî) nedan** onu biriyle değiştirmemek ~ **çêtir** 1) iyisi 2) iyisi mi ~ **çêtir ew e ku** iyisi * **a çêtir ew e ku tu têkilî bi vî tiştî mekî** iyisi bu işe karışma... ~ **çi halê çi** ne gezer * **kara çi, halê çi** kâr mı, ne gezer efendim ~ **dawîn (an jî paşîn)** sonuncu ~ **(yekî) di (...) de man** boyunun ölçüsünü almak * **te gotibû ez dê bikim, îcar a te di te de ma?** sen yapacağını söylemiştin, şimdi boyunun ölçüsünü aldın mı? ~ **dilê xwe gotin** anlatmak (veya meramını anlatmak) ~ **dilê xwe kirin** dilediğini yapmak ~ **din (an jî dîtir)** başkası ~ **do (duh)** dünkü * **piling a duh** dünkü kaplan ~ **ewa** böylecene, böylelikle, böylesi ~ **ewil** eski göz ağrısı ~ **(yekî) êrîşa ewil bûn** bir atımlık barutu olmak (veya kalmak) * **dev jê biqerin, jixwe a wî êrîşa ewil e** adamı boş verin, zaten onun bir atımlık barudu var ~ **gavek berê** kısa bir süre önce ~ **gavekî din** demincek, deminki ~ **hê (hêja an jî hîna) temam çûn** yeri soğumadan ~ **ji min jî ew qas** benden de al o kadar ~ **ji te re** al sana, gördün mü ~ **ku ... dît** birdenbire * **a ku me dît deriyê odeya ku em lê bûn, vebû** birden bire bulunduğumuz odanın kapısı açılıverdi ~ **ku me di ber dilê xwe re anî, tu nebû** hayal ettiğimiz hiçbir şey gerçekleşmedi ~ **li dû** sonraki ~ **li pey** sonraki ~ **mayê pê kirin** elden ne geldiyse yapılmak ~ **me** bizimki (dişil için) ~ **mêran bûn** evlilik çağında olmak (kız için) ~ **navîn** orta boy * **qedeh a navîn** orta boy bardak ~ **nebûyî** görülmemiş şey * **a nebûyî anî serê wê** ona görülmemiş bir şey yaptı ~ **nekirî** görülmemiş, yapılmamış şey ~ **nemayî anîn serê (yekî)** (birinin) başına getirmedik şey bırakmamak, (birinin) alnını karışlamak ~ **(yekî) pê hatin** dileği yerine gelmek, istediği olmak ~ **piştî (yekî)** sonraki ~ **pordirêja dînik** saçı uzun aklı kısa ~ **qasek berê** demincek ~ **qenciyê qenc,** ~ **xerabiyê xerab dibêje** iyiye iyi kötüye kötü demek ~ **rast** 1) iyisi, doğrusu, en doğrusu * **a rast, ê ku ev tişt kiriye ew e** doğrusu, bu işi yapan odur 2) bir kere (aslında) * **a rastî ew virek e** bir kere o yalancı ~ ~ **sibehê (an jî beyanî)** sabahki **(...) û (...) qedîn** bir daha yüzüne bakmamak (darılıp ilişkiyi kesmek) ~ **vê gavê** demincek ~ **xerab** işin kötüsü (veya fenası) ~ **xwarinê** kaşık düşmanı (şaka; kadın, eş) ~ **xwe kirin** bildiğini yapmak ~ **xwe kirin yek** ittifak etmek ~ **xwe qedandin** koparıp atmak (ilgisini kesmek) ~ **xwe û (yekî) qedandin** (birini) defterden silmek

**a a** *b* eh eh, dandini (uyku, uyuma) ~ ~ **kirin** eh eh yapmak (çocuk dilinde uyumak)

**abad** *bnr* ava

mamak (yek) ~ **serî kirin** başını bağlamak (birini nişanlamak veya evlendirmek) ~ **serî li hev qelibîn** yüz yüze gelmek (aniden karşılaşmak) ~ **serî silav dan** baş kesmek (selâm için baş eğmek) ~ **serserîtiyan çûn (tiştekî)** yaş tahtaya (veya yere) basmak ~ **sexbêrî lebat kirin** tutumlu davranmak ~ **sing ketin hev** boğazlaşmak, kıyasıya dövüşmek ~ **singir û pingur** etli canlı ~ **siya xwe re li hev nekirin** bokuyla kavga etmek ~ **sonda qesemê** yemin kasem ~ **sonda temam** yemin billah ~ **sozdanê tişt çênabe** bal bal demekle ağız tatlılanmaz ~ **sozê mêrê berê** söz bir Allah bir ~ **şelafî serî li ber çemandin** yalakalık etmek ~ **şelaqî û melaqiyan bi dora (yekî) ketin** el etek öpmek (yaltaklanmak) ~ **(wî) şertê** pahasına * **bi wî şertê ku ez ji trêna xwe mam jî, ez li bendê sekinîm** treni kaçırmak pahasına onu bekledim ~ **şexsê xwe** *h* kendisi, bizzat ~ **(yekî) şêwirîn** (birinden) fikir (veya fikrini) almak ~ **şid lê dan** ekleştirmek ~ **şîn û girîn** göz yaşları arasında * **bi şîn û girîn ew binax kirin** göz yaşları arasında toprağa verildi ~ **şîrqaman (li yekî) xistin** tokat atmak (aşk etmek veya patlatmak) ~ **şûn de hatin avêtin** ertelenmek ~ **şûn de hatin zivirandin** (an jî **vegerandin)** tepilmek (geri çevrilmek) ~ **tabîra amiyane** amiyane tabiriyle ~ **tayekî xav bi hev ve girê dan** (bir işi) pamuk ipliğiyle bağlamak ~ **tayekî xav bi hev ve girêdayî bûn** (bir işi) pamuk ipliğine bağlı olmak ~ **tayekî xav çavê (yekî) girê dan** gözünü bağlamak ~ **tayekî xav (yek) girê dan** birini çok çabuk kandırmak ~ **tehma devê xwe zanîn 1)** ağzının tadını bilmek **2)** ağzının tadını bilmek (her şeyin güzelini, iyisini bilmek, anlamak) ~ **temenan çûn balê** yanına salâvatla varılır (çok kibirli) ~ **tehn û niçan çûn hev** elleşmek (birine dokunacak söz söylemek) **(yek)** ~ **tena serê (wî) hiştin** başını boş bırakmak ~ **tena serê xwe 1)** bir (veya tek) başına **2)** tek başına (başka birinin yardımı olmaksızın) ~ **tena serê xwe man** yalnız başına kalmak ~ **tena serê xwe pê re man** (bir şeyle veya kimseyle) baş başa kalmak * **divê keçik bi tena serê xwe pê re bimîne** kız onunla baş başa kalmalı **(yek)** ~ **tenê hiştin** (birini) tecrit etmek ~ **terpûskan çûn hev** elleşmek (elle itişerek şakalaşmak) ~ **tiliya** (an jî **pêçiya) kul de mîz kirin** yaralı yaralı parmağa işemek ~ **tiliyan nîşanî hev dan** parmakla gösterilmek ~ **tirs û sawê** titrete titrete ~ **tiştekî girtin** bir yol tutturmak * **her kes ji xwe re bi tiştekî girtiye û diçe** herkes kendince bir yol tuturmuş gidiyor işte ~ **tiştekî nehesibandin 1)** kale almamak **2)** hiçe saymak (veya hiç indirgemek) ~ **tiştekî re negihîştin** baş edememek **(yek)** ~ **tiştekî zanîn** bir şey sanmak * **min jî tu bi tiştekî zanibû** ben de seni bir şey sanmıştım ~ **tiştên beredayî re mijûl bûn** abesle uğraşmak (veya abesle iştigal etmek) ~ **tiştikên beredayî wext derbas kirin** (an jî **mijûl bûn)** abesle uğraşmak (veya abesle iştigal etmek) ~ **tîrekê du nîşan hildan** bir taşla iki kuş vurmak ~ **(tiştekî) ve bûn** (bir şeye) düşkün olmak ~ **(yekî) ve bûn wekî dêlî** (birine) sülük gibi yapışmak ~ **(yekî) ve danîn** (birine) yapıştırmak ~ **(karekî) ve hatin girêdan** ayak basmak (bir mesleğe girmek, bağlanmak) ~ **(yekî) ve zeliqîn 1)** (birine) yapışmak **2)** (birine) ısrar etmek ~ **vir de reş nebû** bu taraflarda görünmedi ~ **vê çûnê** bu gidişle * **bi vê çûnê ancax em dikarin êvarkî bigihîjin malê** bu gidişle ancak akşama eve varırız ~ **vê qûnê naçî cûnê** aksak eşekle yüksek dağa çıkılmaz ~ **vê qûşê tu naçî Mûşê** aksak eşekle yüksek dağa çıkılmaz ~ **vê yekê re** bununla birlikte (veya bununla beraber) ~ **vî awayî** (an jî **terhî) 1)** böylece, böyle böyle **2)** bu gidişle ~ **vî çavî** bu gözle * **divê tu bi vî çavî bûyerê nenirxînî** olayı bu gözle değerlendirmemelisin ~ **wan re canêcanê bûn** haşir neşir olmak ~ **wan re canêcanê kirin** haşir neşir etmek ~ **werîsê jinê xwe bernede bîrê** kadının ipiyle kuyuya inme ~ **werîsê petot, xwe bernede bîrê** başkaların ipiyle kuyuya inme ~ **wesîteya (yekî)** aracılığıyla, birinin aracalığıyla, bilvasıta ~ **wê texmê de neçûn** semtine uğramamak ~ **xasûktî (kar û barek) gerandin** işi kurnazca yönetmek, dümen kullanmak ~ **xatirê te** (an jî **we)** hoşça kal (veya kalın), elveda ~ **xatirê Xwedê bikî** Allah aşkına ~ **xebera (yekî) kirin** dinlemek, (birinin sözünü, öğüdünü kabul edip gereğince davranmak) ~ **xebera nefsa xwe kirin** nefsine uymak ~ **xebera xweş mirov ji qulê derdixe marê reş** tatlı dil yılanı deliğinden çıkarır ~ **xeberdana nerm mar ji qunê** (an jî **qulê) tê der** tatlı dil yılanı deliğinden çıkarır ~ **xeberdanê dan girê dan** birini lafa tutmak ~ **xeberdanê (yek) dan girêdan** ağzına bir parmak bal çalmak ~ **xerabî lê nihêrtin** bet bet bakmak ~ **xêr here bi xêr were** Allah kavuşturşun ~ **xêr û xweşî** hayırlısıyla, hayırlısı ile ~ **xêr û xweşî be** Allah hayırlı etsin (veya kılsın) ~ **xêr û xweşî hatî** (an jî **hatin)** sefa geldin (veya sefa geldiniz) ~ **xêra bavê nan dixwe** baba fırın has işler ~ **xêra (yekî) pê ketin** (birinin) sırtından (para) kazanmak ~ **xêra qelema xwe debara xwe kirin** kalemiyle yaşamak (veya geçinmek) ~ **xêza Xwedê** Allah aşkına ~ **(...) xistin** -e yakıştırmak ~ **xûyê (yekî)**

zanîn huyunu bilmek **(tiştik miştik) ~ xwaza** (an jî **xaza) Xwedê (bikî)** Allah aşkına * **tu bi xwaza Xwedê bikî, a rast bibêje** Allah aşkına doğrusunu söyle ~ **xwe de kirin** takıp takıştırmak ~ **xwe ewle** göğsünü gere gere, kendine gövenerek ~ **xwe karibûn** nefsine hakim olmak ~ **xwe ne ji xêrê re şandinê pey (me)** eşeği düğüne çağırmışlar, "ya su lazımdır, ya odun" demiş ~ **xwe re** beraberinde, yanı sıra ~ **xwe re girtin û mirin** gümleyip gitmek ~ **xwe tê de tiştek heye?** düğün değil, bayram değil, eniştem beni niye öptü? ~ **Xwedê** Allahıma ~ **Xwedê bikî** Allah aşkına ~ **xweşikî (wan) li hev bi keys kirin** işi tatlıya bağlamak ~ **xweşî pêşwazî kirin** hüsnükabul göstermek ~ **xweşkayî** güzellikle, iyilikle ~ **xweşkayî hel kirin** güzellikle çözmek ~ **xweşkayî (tiştek) hel kirin** tatlıya bağlamak ~ **xweşkî çûn balê** yanına salâvatla varılır (çok öfkeli) ~ **xweziyan dest naçe piziyan** çalışıp çabalamadan insan bir şeyi elde edemez ~ **xwêdana eniyê** alının teri ile, bileğinin hakkı ile ~ **xwêdana eniya xwe qezenc** (an jî **heq) kirin** alın teri ile kazanmak ~ **ya (...)** -e göre, sorulursa * **bi ya min her du jî mîna hev in** bana göre ikisi de bir ~ **ya (yekî)** (şuna veya buna) kalsa (veya kalırsa) * **bi ya min hûn rast nabêjin** bana kalırsa siz doğru söylemiyorsunuz ~ **ya dilê xwe** gönlüne göre, dileğine göre ~ **ya kesekî nekirin** takmamak (önemli saymamak, değer vermemek) ~ **ya (yekî) kirin 1)** dinlemek (birinin sözünü, öğüdünü kabul edip gereğince davranmak) **2)** riayet etmek ~ **ya xwe kirin** bildiğini yapmak ~ **yekkirina dil** gönül birliği ~ **zanîna** (an jî **zanebûna) min** bildiğim, bildiğim kadarıyla ~ **zar û zêç** evli barklı ~ **zar û zêç bûn** evli barklı olmak ~ **zar û ziman** dilli, konuşabilen ~ **zar û ziman bûn 1)** dili olmak **2)** dile gelmek ~ **zarokan** (an jî **sebiyan) re zarok** (an jî **sebî), bi mezinan re mezin bûn** çocukla çocuk, büyükle büyük olmak ~ **zena ...** diyerek, sanarak ~ **zend û bend 1)** etli butlu **2)** güçlü kuvvetli (çok güçlü, çok dayanıklı kimse) ~ **zend û bend bûn 1)** etli butlu olmak **2)** güçlü kuvvetli olmak ~ **zextan çûn (yekî)** *l/bw* dürtmek (tahrik etmek ~ **zilm tişt dan** tuzluya satmak ~ **zimanê xwe hatin girtin** diliyle tutulmak (veya yakalanmak) ~ **zimanê xwe karîn** dilini tutmak ~ **zimanê xwe (yek) kuştin** diliyle sokmak ~ **zimanê xwe li xwe şahidî dan** yakayı ele vermek ~ **zimanê xwe nekarîn** dilini tutamamak ~ **zimanê xwe sûcê xwe dan dest** diliyle tutulmak (veya yakalanmak) ~ **zimanê xwe şihitîn** sürç ü lisan etmek ~ **zimanê xwe xwe dan dest** yakayı ele vermek ~ **zimanê xweş bi dora (yekî) ketin** alttan (veya aşağıdan) almak ~ **zincîrê (yek) girê dan** (birini) demire bağlamak ~ **zîtikan li hev xistin** (an jî **dan)** tepişmek ~ **zor û heft belayan** güc belâ ~ **zor û zehmetiyan** güç halle (veya gücü gücüne) ~ **zorê** zorla, zor belâ ~ **zorê gihîştin (tiştekî)** nefes nefese kalmak, dara dar kalmak ~ **zorê gotin ji devê (yekî) derxistin** (söz, lâkırdı) ağzından dirhemle çıkmak

**bi acizkerî** *rd/h* sırnaşıkça

**biadan** *nd/rd* **1.** besleyici **2.** besinli

**bi adutî** *rd/h* sırnaşıkça

**biafir** *rd* yemlikli

**bi agir leyîstin** *l/bw* ateşle oynamak

**biagire** *rd* frengili

**biahên** *rd* elemli

**biakort** *rd* akortlu

**biala** *rd* bayraklı

**bialav (I)** *rd* âletli

**bialav (II)** *rd* alevli

**bialbûmîn** *rd* albüminli

**bialek** *rd* yanaklı

**bialet** *rd* âletli

**bialî** *rd* taraflı

**bialîxwe dan** *m* fark gözetme

**bi alî xwe dan** *l/bw* fark gözetmek

**bialkol** *rd* **1.** alkollü (içinde alkol bulunan) **2.** alkollü, içkili (alkol içmiş olan kimse) **3.** içkili (alkol satılan yer) * **lokantaya bialkol** içkili lokanta

**bialmast** *rd* elmaslı

**bialozî** *rd* kargaşalı

**biamadehî** *rd* hazırlıklı

**biamadehîbûn** *m* hazırlıklı olma (veya bulunma)

**bi amadehî bûn** *l/bw* hazırlıklı olmak (veya bulunmak)

**biamadekarîbûn** *m* ihtiyatlı bulunma

**bi amadekarî bûn** *l/bw* ihtiyatlı bulunmak

**biaman** *rd* kaplı (kap kacaklı)

**biambelaj** *rd* ambalajlı

**biamîp** *rd* amipli

**biamîretkirin** *m* donatma

**bi amîret kirin** *l/bw* donatmak

**biamoşî** *h* sakince

**biamraz** *rd* âletli

**biantet** *rd* antetli

**biantreman** *rd* antremanlı

**biapore** *h* kalabalıkça

**biaqil** *rd* **1.** akıllı **2.** uslu, akıllı ~ **û di hedê xwe de** akıllı uslu ~**ê xwe** *h* * **bi aqlê xwe dê min bixapîne** aklınca beni kandıracak ~**ê xwe ve hatin** akıl kemal olmak

**biaqilbûn** *m* **1.** akıllanma, akıllı olma **2.** akıllılık **3.** uslanma **4.** usluluk

**bi aqil bûn** *l/bw* **1.** akıllanmak, akıllı olmak **2.** uslanmak, uslu olmak

**biaqilî** *m* akıllılık ~ **kirin** akıllılık etmek

**biaqilkirin** *m* akıllandırma
**bi aqil kirin** *l/bw* akıllandırmak
**biaqiltî** *m* akıllılık
**biaqûbet** *rd* geçimli
**biar (I)** *rd* ateşli, ateşi olan
**biar (II)** *rd* unlu
**biaram** *rd* sakin
**biaramî** *h* sakince
**biaran** *rd* sızılı
**biarastebûnî** *h* yönelmiş olarak
**bi aravê şûştin** *l/bw* killemek
**biard** *rd* unlu
**biardbûn** *m* unlanma
**bi ard bûn** *l/bw* unlanmak
**biarik** *rd* damaklı
**biarinc** *rd* sızılı
**biaring** *rd* küllü
**biarîşe** *rd* sorunlu, problemli
**biarmanc** *rd* amaçlı
**bi arsimê ketin** *l/bw* nezleye yakalanmak
**biarvan** *rd* unlu
**biarvanbûn** *m* unlanma
**bi arvan bûn** *l/bw* unlanmak
**biasanî** *h* rahatlıkla, kolaylıkla
**biasaw** *rd* urlu
**biasetat** *rd* asetatlı
**biasîmanketin** *m* göğe yükselme
**bi asîmanan ketin** *l/bw* göğe yükselmek
**biasteng** *rd* engelli
**biastim** *rd* astımlı
**bi aşirî** *h* aşırıca, taşkınca
**bi aşkera** *h* açık, açık seçik, açıkça
**bi aşkerahî** *bnr* bi aşkerayî
**bi aşkerayî** *h* açıkça, alenen, açıktan açığa ~ **li ser hev kêm kirin** açık eksiltmek
**biaşop** *rd* hayalli
**biaşxane** *rd* lokantalı * **vagona biaşxane** lokantalı vagon
**bi atiyê ketin** *l/bw* sara nöbet geçirmek
**biatlebûn** *fiz/rd* 1. aralıklı 2. kesintili (ara verilerek yapılan)
**biatlehî** *rd* kesintili (ara verilerek yapılan)
**biav** *rd* 1. sulu 2. sulu (suyu çok olan) * **lîmona biav** sulu limon ~**a deniyan behicîn** *argo* bok yoluna gitmek ~**a firingiyan** salçalı
**biavantaj** *rd/nd* avantajlı
**biavbûn** *m* 1. sulanma 2. sulanma (suyu çoğalıp yoğunluğu azalma)
**biav bûn** *l/bw* 1. sulanmak 2. sulanmak (suyu çoğalıp yoğunluğu azalmak)
**biavbûyîn** *m* sulanış
**bi avê de çûn** *l/bw* 1. emeği boşa gitmek 2. boşa gitmek
**biavkirin** *m* sulandırma
**biav kirin** *l/bw* sulandırmak
**biavrêjk** *rd* akıntılı
**biavsûn** *rd* sihirli
**biavtirşik** *rd* salçalı
**biavxwîn** *rd* akıntılı, sızıntılı (yara vb. için)
**biavzêm** *rd* bataklı
**biavzûm** *rd* tokalı
**biavzûng** *rd* tokalı
**biawêne** *rd* aynalı
**biax** *rd* topraklı
**bi axaftinê ketin** *l/bw* dillenmek (çocuk; konuşmaya başlamak)
**biaxlemî** *h* ekseriya
**biaxû** *rd* ağılı, zehirli
**biaxûbûn** *m* 1. ağılanma 2. zehirlilik
**bi axû bûn** *l/bw* ağılanmak
**bi azadî** *h* özgürce
**biazar** *rd* eziyetli
**biazîn** *rd* yöntemli
**biazot** *rd* azotlu
**biba (I)** *rd* kösnül, çiftleşme durumunda olan hayvan (özellikle kancık)
**biba (II)** *rd* rüzgârlı, yelli ~ **û bager** boralı
**bibabet** *rd* konulu
**bibabirk** *der/rd* yelkenli
**bibac** *rd* vergili
**bibacan** *rd* patlıcanlı
**bibaçîk** *rd* çavdarlı
**bi badanê** *h* büke büke
**bibadef** *rd* tipili
**bibadek** *rd* burgulu
**bibager** *rd* fırtınalı
**bibahane** *rd* bahaneli
**bi bahorê ketin** *l/bw* nezleye yakalanmak
**bibahoz** *rd* fırtınalı
**bi balafirê** *h* uçak ile
**bibaldarî** *h* dikkatlice, kuvvetle (güçlü ve sağlam bir biçimde) * **divê mirov bi baldarî li ser vê meseleyê bisekine** bu mesele üzerine kuvvetle durmak lazım
**bibaldeçûn** *m* 1. yanaşma 2. yanına gitme
**bi bal de çûn** *l/bw* 1. yanaşmak 2. yanına gitmek
**bibalîcan** *rd* patlıcanlı * **kebaba bibalîcan** patlıcanlı kebab
**bibamişt** *rd* tipili
**biban** *rd* damlı, çatılı
**bibandira** *rd* bandıralı
**bibandor** *rd* 1. etkili, tesirli 2. etkili, dokunaklı, çarpıcı 3. *h* esaslı ~ **bûn** etkili olmak
**bibandorbûn** *m* etkili olmak
**bi bandor bûn** *l/bw* 1. etkili olmak 2. etkilenmek
**bibandorî** *m* 1. etkililik 2. dokunaklılık
**bibangurdan** *rd* silindirli
**bi bapêşê ketin** *l/bw* nezleye yakalanmak, nezle olmak
**bibapûk** *rd* tipili
**bibar** *rd* 1. yüklü 2. (mec) yüklü, hamile
**bi bar bûn** *l/bw* 1. yüklü olmak, yüklenmek 2. bebek beklemek
**bibaran** *rd* yağmurlu
**bibarimte** *rd* ipotekli
**bibaristan** *rd* tahammüllü, götürümlü
**bibarî** *m* yüklülük
**bibask** *rd* kanatlı

**bibaskbûn** *m* kanatlanma (uçmaya başlama)
**bi bask bûn** *l/bw* kanatlanmak (uçmaya başlamak)
**bibastan** *rd* gelenekli
**bibaşî** *h* iyilikle
**bibatî** *rd* taşaklı
**bibav** *rd* **1.** babalı (babası olan) **2.** vefalı
**bibawan** *der/rd* yelkenli
**bibawerhişkî** *h* yobazca
**bibawername** *rd* diplomalı, sertifikalı
**bibayê bezê** *h* alelâcele, dazara dazar, dazara dazır, yellim yelalim, rüzgâr gibi
**bi bayê bezê çûn** *l/bw* yelmek
**bibayê birûskê** *h* yellim yelalim, rüzgâr gibi, çok çabuk
**bi bayê çûn** *l/bw* apazlamak (yelkenli gemiler için)
**bibazar** *rd* pazarlıklı ~ **bazara xwe re zeliqîn** sıkı pazarlık yapmak
**bi bazarhişkî** *h* sıkı pazarlıkla, vurtut
**bibazdanê** *h* koşaraktan
**bibazin** *rd* bilezikli
**bibazor** *rd* fırtınalı
**bi beddolî** *h* soysuzca
**bi bedenî** *h* bedenen
**bi bedewa** *h* beleşten, cabadan
**bibedêl** *h* **1.** keşikleme, nöbetleşe, sırayla **2.** bedelli **3.** dönüşümlü * **greva xwebirçîhiştinê ya bi bedêl** dönüşümlü açlık grevi ~ **kirin** nöbetleşmek
**bi bedêl gotin** *l/bw* sırayla söylemek * **werin em bi bedêl stranan bibêjin** gelin sırayla türkü söyleyelim
**bibedêlkirin** *m* nöbetleşme
**bi bedêl kirin** *l/bw* nöbetleşmek
**bibedl** *rd* kostümlü
**bi bednîjadî** *h* soysuzca
**bibehçe** *rd* bahçeli
**bi behitînî** *h* afal afal
**bibejn** *rd* boylu, endamlı ~ **û bal 1)** boylu poslu, dalyan gibi **2)** boylu (boyu benzerlerinden uzun olan)
**bibekre** *rd* balçıklı
**bibela** *rd* belâlı * **karekî bibela** belâlı bir iş
**bi belaş** *h* beleşten
**bibelaşî** *h* beleşten, bedavadan (veya bedavasına), cabadan
**bibelexet** *rd* belâğatlı
**bibelg** *rd* yapraklı
**bibelge** *rd* belgeli
**bibelgekirin** *m* belgeleme
**bi belge kirin** *l/bw* belgelemek
**bibelgename** *rd* belgeli, senetli ~ **û sened** senetli sepetli
**bibelor** *rd* billûrlu
**bibelqitî** *b* geberesin ~ **înşelah** geberesin inşallah
**bibelxem** *rd* balgamlı
**bi ben leyîstin** *l/bw* ip atlamak
**bi ben ve kirin** *l/bw* ipe dizmek
**bibende** *rd* köleli
**bibendik** *rd* **1.** askılı (elbiselerdeki askı) **2.** şeritli (dar, uzun parça ve özellikle dokuma veya kumaş parçası için)
**bi bendik ve kirin** *l/bw* şeritlemek
**bibendûbar** *rd* disiplinli * **dibistana bibendûbar** disiplinli okul
**biben** *rd* ipli **(yek) ~ekî xav girê dan** birini tongaya getirip kandırmak
**bibenîşt** *rd* sakızlı
**biber (I)** *rd* **1.** hâsılatlı, ürünlü, verimli, semereli **2.** verimli, zengin **3.** *mec* hamile
**biber (II)** *rd* **1.** enli * **qumaşekî biber** enli bir kumaş **2.** geniş (sert nesneler için)
**biber (III)** *rd* taşlı
**biberan** *rd* çiftleşme isteğini duyan koyun
**bi ber avê ketin** *l/bw* akıntıya kapılmak
**bi berawirdiyê** *h* kıyasen
**bi ber ba ketin** *l/bw* **1.** aldırmak **2.** darmadağın olmak
**biberberî** *rd* çekişmeli
**bi berberokî** *h* çığırtkanca
**biberbest** *rd* engelli
**biberbûn (I)** *m* **1.** enli olma, eni geniş olma **2.** enlilik
**biberbûn (II)** *m* verimlilik
**bi ber çav hatin** *l/bw* değer verilmek
**biberçavk** *rd* gözlüklü
**bi ber çav ketin** *l/bw* göze ilişmek, görünmek
**biberçêlk** *rd* kursaklı
**biberd** *rd* taşlı
**bi ber dev xistin** *l/bw* bir şeyi birine vermek özere söz vermek
**biberdewam** *rd* devamlı, sürekli (kesintisiz olarak)
**bi berdewamî** *h* durmaksızın
**biberdilk** *rd* önlüklü (çocuk önlüğü için)
**biberdîne** *rd* taşıllı, fosilli
**bibere** *rd* bereli (başlık için)
**bibereber** *rd* şamatalı
**bi bereberetî** *h* tedricî olarak
**biberek** *rd* testereli
**bibereket** *rd* bereketli
**bi bereket bûn** *l/bw* bereketlenmek
**bibereketî** *m* bereketlilik
**biberestû** *rd* yakalı
**biberf** *rd* karlı
**bi berfirehî** *h* derinlemesine, derinliğine, etraflıca, genişçe
**biberg** *rd* **1.** kapaklı **2.** ciltli
**bi berger** *h* ısrarla
**bi bergerî** *h* ısrarla
**bibergirk** *rd* tıkaçlı
**bibergîdan** *rd* karşılıklı
**biberik** *rd* fişekli
**biberjeng** *rd* kanıtlı
**biberjêr** *rd* inişli ~ **û derbejor** (an **jî berjor)** inişli çıkışlı (veya yokuşlu)

**biberketin (I)** *m* 1. üzülme 2. acıma 3. yerinme 4. vahvahlanma, tasa çekme, tasa etme, tasalanma, yazıklanma, eseflenme 5. yüreğine oturma
**biberketin (II)** *m* kavrama (anlama, algılama)
**bi ber ketin (I)** *l/bw* 1. üzülmek, acı duymak 2. acımak, merhamet etmek * **ez ber bi zar û zêçên wî ketim, loma min ew neda mehkemeyê** çoluğuna çocuğuna acıdım da mahkemeye vermedim 3. yerinmek 4. vahvahlanmak, tasa çekmek, tasa etmek, tasalanmak, yazıklanmak, eseflenmek, esef etmek, hüsrana uğramak, efkârlanmak 5. yüreğine oturmak
**bi ber ketin (II)** *l/bw* kavramak (anlamak, algılamak)
**biberketî (I)** *rd* üzgün, üzülmüş olan
**biberketî (II)** *rd* kavrayışlı
**biberkêşk** *rd* çekmeceli
**biberkî** *h* ısrarla
**biberkî** *rd* ısrarlı
**biberkurk** *rd* kursaklı
**bi ber lehiyê ketin** *l/bw* sele kapılmak
**bibername** *rd* programlı
**bibernavk** *m* lâkaplı
**bi bernavkî** *h* takma adla
**biberneketin** *m* 1. üzülmeme 2. kıyma, kıyış (acımadan verme, feda etme)
**bi ber neketin** *l/bw* 1. üzülmemek 2. kıymak (acımadan vermek, feda etmek)
**biberpal** *rd* arkalıklı
**bi ber pêlan ketin** *l/bw* dalgalara kapılmak
**bi berpirsî** *h* sorumluca
**bi ber pişika xwe ve çûn** *l/bw* bübürlenmek
**biberqaz** *rd* mazgallı
**bi ber re avêtin** *l/bw* imalı konuşmak, önüne laf atmak
**bibersitok** *rd* yakalı
**bibersîv** *rd* yanıtlı
**biberstû** *rd* yakalı
**biberstûk** *rd* yakalı, yakalıklı
**bi berstûkê girtin** *l/bw* yakasına yapışmak
**bibertûrk** *rd* kursaklı
**bibervank** *rd* önlüklü, peştemallı
**bi bervedarî** *h* vekâleten
**bi bervedêrî** *h* vekâleten
**bi ber ve hatin** *l/bw* karşılamaya gelmek
**biberx** *rd* kuzulu
**biberxik** *rd* kuzulu
**biberxistin (I)** *m* kavratma
**biberxistin (II)** *m* bir şeyi birine vermek üzere söz verme
**bi ber xistin (I)** *l/bw* algılatmak, kavratmak
**bi ber xistin (II)** *l/bw* bir şeyi birine vermek üzere söz vermek
**biberxweketin** *m* 1. üzülme 2. utanma
**bi berxwe ketin** *l/bw* 1. üzülmek dövünmek * **bi ber xwe diket ku Kurdî nehêwisîbû** Kürtçeyi öğrenmediğine dövünüyordu 2. utanmak
**bi ber xwe neketin** *l/bw* uslanmamak
**bi ber xwe xistin** *l/bw* bir şey yapmaya girişmek
**bibesîret** *rd* basiretli
**bibeskurk** *rd* yakalı
**bibestik** *rd* yakalı
**bibeşavend** *wj/rd* kafiyeli
**bibeşt** *as/rd* kirişli
**bi betalkirinê** *h* nakzen
**bibetan** *rd* astarlı
**bibeton** *rd* betonlu
**bibexdadî** *rd* bölmeli * **odeya me bibexdadî ye** odamız bölmeli
**bibexşîne** *b* pardon
**bibexşînin** *b* afedersiniz * **bibexşînin, ez vê napejirînim** afedersiniz, bunu kabul etmem
**bibeysûs** *rd* ferli
**bibez** *rd* yağlı, besili, semiz
**bibezm** *rd* eğlenceli, şenlikli
**bi bêalkolî** *h* içkisiz, içki içmemiş olarak
**bi bêaramî** *h* huzursuzca
**bi bêarezû** *h* isteksizce
**bi bêarî** *h* hayâsızca, utanmazca
**bi bêatlebûn** *h* aralıksız, durmadan
**bi bêatlebûnî** *h* vızır vızır, durmadan, habire
**bi bêbavî** *h* soysuzca
**bi bêbextî** *h* kalleşçe, kahpece
**bi bêcirî** *h* huysuzca
**bi bêdebî** *h* terbiyesizce
**bi bêdengî** *h* sessizce
**bi bêdil** *h* kerhen, istemeyerek, istemeye istemeye
**bi bêdilî** *h* isteksizce
**bi bêdudilî** *h* tereddütsüzce
**bi bêedebî** *h* edepsizce, görgüsüzce
**bi bêesilî** *h* soysuzca
**bi bêetlehî** *h* aralıksız olarak, durmadan
**bi bêfedîtî** *h/rd* utanmazca, yüzsüzce
**bi bêfehitî** *rd/h* utanmazca, hayâsızca
**bi bêfehmî** *h* anlayışsızca, düşüncesizce
**bi bêfihêtî** *h* utanmazca
**bi bêgavî** *h* mecburen
**bi bêgiramî** *h* saygısızca
**bi bêhawetî** *h* kalleşçe
**b ibêhayî** *h* habersizce
**bi bêhemdî** *h* 1. isteksizce 2. istemeyerek, ezkaza, kazara 3. kerhen, istemeyerek, istemeye istemeye
**bi bêheqî** *h* ücretsiz, para verilmeden
**bi bêhesabî** *h* 1. hesapsızca 2. hesapsızca (sayısızca)
**bi bêhewatî** *h* sabırsızlıkla
**bi bêhişî ketin xewê** *l/bw* şuursuzca uykuya dalmak
**bi bêhizûrî** *h* huzursuzca
**bibêhn** *rd* kokulu, misket * **sêva bibêhn** misket elması * **hermiya bibêhn** misket armudu
**bibêhna fireh** *h* sabırla, sabırlı bir şekilde,

aceleye getirmeden ~ **bêsîre dibe doşav** sabrın sonu selamettir
**bi bêhnefişkê** *h* soluk soluğa * **bi bêhnefişkê hate malê** soluk soluğa eve geldi
**bi bêhnfirehî** *h* sabırla
**bi bêhurmetî** *h* saygısızca
**bi bêînsafî** *h* insafsızca
**bibêje** *b* söyle ('gotin' kuralsız fiilinden)
**bibêjik** *rd* yeleli
**bibêlan** *rd* tepeli
**bi bêmaweyî** *h* süresiz olarak
**bi bêmehr** *h* nikâhsızca
**bi bêmerhametî** *h* merhametsizce, acımasızca
**bi bêmizeyî** *h* ücretsiz olarak, para verilmeden
**bi bêmûçeyî** *h* ücretsiz olarak, para verilmeden
**bi bênamûskî** *h* namussuzca
**bi bêpere** *h* parasız olarak
**bi bêperwa** *h* pervasızca
**bi bêpîrî** *h* görgüsüzce
**bi bêpîrûpergalî** *h* görgüsüzce
**bi bêpuşulî** *h* edepsizce
**bi bêqezatî** *h* kazasız olarak
**bibêr (I)** *rd* bitek, verimli * **ev erdên bibêr** bu bitek topraklar
**bibêr (II)** *rd* kürekli
**bibêrê û rêzan** *rd* usulsuzca
**bibêrik** *rd* kürekli
**bi bêriyî** *rd* usulsuzca
**bibêrm** *rd* havuzlu
**bi bêsebirî** *h* sabırsızlıkla
**bi bêsemaxî** *h* sabırsızlıkla
**bi bêserûberî** *h* **1.** düzensiz olarak **2.** karman çorman bir biçimde **3.** kargaşalı bir şekilde
**bi bêsexbêrî** *h* savurganca ~ **zêde** bol keseden
**bi bêşermî** *h* utanmazca, yüzsüzce
**bi bêtebatî** *h* sabırsızlıkla
**bi bêtedbîrî** *h* tedbirsizce
**bi bêterbiyetî** *h* terbiyesizce
**bi bêteredûtî** *h* tereddütsüz olarak
**bi bêteşeyî** *h* kabaca
**bi bêtifaqî** *h* kazasız olarak
**bibêvil** *rd* burunlu
**bibêwan** *rd* tarlalı
**bi bêwicdanî** *h* vicdansızca
**bi bêxeber** *h* habersizce
**bi bêziravî** *h* ödlekçe
**bibiharet** *rd* baharlı
**bi bihayê mirî** *h* ölü fiyatına
**bibihok** *rd* ayvalı böcekli
**bi bihostan** *h* karışla ~ **pîvan** karışlamak
**bibihurîn** *rd* geçeli
**bibijang** *rd* kirpikli
**bibijanik** *rd* kirpikli
**bi bijartinî** *h* seçmece
**bibijî** *rd* perçemli, yeleli
**bibilbilik** *rd* ibikli, emzikli (çaydanlık, ibrik gibi kaplar için)
**bibilindek** *rz/rd* şapkalı (üzerinde düzeltme işareti bulunan ünlü)
**bibin** *rd* tabanlı
**bi binaxe bûn** *l/bw* esaslanmak
**bi bin erdê ketin** *l/bw* yerin dibine girmek
**bi binê xwe de kirin** *l/bw* **1)** donuna yapmak (veya doldurmak) **2)** donuna yapmak, donuna doldurmak (çok korkmak)
**bibingeh** *rd* temelli
**bi bingeh bûn** *l/bw* esaslanmak
**bi bingehî** *h* temelinden, esasen
**bibinik** *rd* tabanlı
**bibinî** *rd* **1.** tabanlı **2.** *mec* paralı **3.** *mec* sinsi ~ **bûn 1)** paralı olmak, kirli çıkkın olmak **2)** sinsi olmak
**bibinîbûn** *m* sinsi olma
**bibinî bûn** *l/bw* sinsi olmak
**bibinîk** *rd* hesapli, sinsi
**bibinketin** *m* **1.** yenilgi, yenilme, yenilgiye uğrama **2.** alt olma
**bi bin ketin** *l/bw* **1.** yenilmek, yenik düşmek, yenilgiye uğramak, mağlûp olmak **2.** yenilmek, sırtı yere gelmek, alt olmak
**bibinketî** *m* yenik, mağlûp
**bi bin re** *h* alttan
**bi bintûtî çûn** *l/bw* temelli gitmek
**bibinxistin** *m* **1.** yenme, yenilgiye uğratma, mağlûp etme **2.** alt etme
**bi bin xistin** *l/bw* **1.** yenmek, yenilgiye uğratmak, mağlûp etmek **2.** alt etmek
**bibinxistî** *rd* yenik, yenilgiye uğramış olan
**bibinyat** *rd* temelli
**bibinyat bûn** *l/bw* esaslanmak
**bibir (I)** *rd* **1.** kesici **2.** *m* kesici (kesme işinde kullanılan araç)
**bibir (II)!** *b* kes!, başlama!
**bi biratî** *h* kardeşçe
**bibirbisok** *rd* pullu * **lê kincekî bibirbisok hebû** üstünde pullu bir elbise vardı
**bibirêş** *rd* filizli
**bibirhan** *rd* kanıtlı
**bibirîn** *rd* **1.** yaralı **2.** kesikli (kesikleri olan)
**bibirînbûn** *m* **1.** kesikli olma **2.** kesiklik
**bi birîndarî** *h* yaralı olarak, yaralı bir şekilde
**bibirk** *rd* havuzlu
**bibirq** *rd* şimşekli ~ **û birûsk** şimşekli (hava için)
**bibirqînî** *rd* ışıltılı
**bibirû** *rd* kaşlı
**bibiryar** *rd* kararlı
**bi biryarî** *h* kararlıca
**bibiryarî** *m* kararlılık
**bibisk (I)** *rd* kaküllü, zülüflü, pürçekli
**bibisk (II)** *rd* lifli
**bibist** *rd* şişli
**bibistî** *rd* filizli, budaklı (sürgünlü ağaç)
**bibişkoj** *rd* düğmeli (düğmesi olan)
**bibişkok** *rd* düğmeli (düğmesi olan)
**bi bitûnî** *h* bütün olarak

**bibixur** *rd* tütsülü
**bibizav** *rd* **1.** hareketli **2.** cesaretli ~ **bûn 1)** hareketlenmek **2)** cesaretlenmek ~ **kirin** cesaretlendirmek
**bibizavbûn** *m* **1.** cesaretli olma **2.** cesaret
**bi bizdonekî** *h* ödlekçe
**bibizir** *rd* tohumlu
**bibizmar** *rd* çivili, mıhlı
**bibizmik** *rd* mandallı
**bibîlya** *rd* bilyeli
**bibîne** *b* gör ( 'dîtin' kuralsız fiilinden)
**bibîr** *rd* **1.** belekli, hafızalı **2.** unutulmaz * **ev rojeke bibîr e** bu unutulmaz bir gün
**bi bîra (...) hatin** *l/bw* hatırlamak
**bi bîra (...) ketin** *l/bw* hatırlanmak
**bi bîra (...) xistin** *l/bw* **1.** anımsatmak, hatırlatmak **2.** çağrıştırmak * ev dengê hanê yekî bi bîra min dixe bu ses kulağıma birini çağrıştırıyor
**bibîranî** *rd* anılmış, yad edilmiş olan
**bibîranîn** *m* **1.** anma **2.** anımsama, hatırlama **3.** anma, zikretme
**bi bîr anîn** *l/bw* **1.** anmak, hatırlamak * **do êvarê me tu bi bîr anî** dün gece seni andık **2.** anmak, zikretmek **(yek)** ~ (birinin) kulağını çınlatmak
**bi bîrdarî** *h* dikkatlice
**bi bîrê xistin** *l/bw* andırışmak
**bibîrhatin** *m* anılma, hatırlanma
**bi bîr hatin** *l/bw* anılmak, hatırlanmak
**bibîrhatî** *rd* anılmış, hatırlanmış olan
**bibîrnexist** *rd* çağrışımsız
**bibîrxistan** *m* **1.** hatırlatma **2.** çağrışım
**bibîrxistin** *m* **1.** anımsatma, hatırlatma **2.** hatırlatma, uyarma **3.** çağrıştırma ~**a dîtinî-bihîstinî** *ped* görsel-işitsel çağrışım
**bi bîr xistin** *l/bw* **1.** anımsatmak, hatırlatmak **2.** hatırlatmak, uyarmak **3.** çağrıştırmak
**bibîrxistinî** *rd* çağrışımlı
**bibobelat** *rd* felaketli
**biboç** *rd* kuyruklu
**biboçik** *rd* kuyruklu
**biboran** *rd* buhranlı
**biborc** *rd* ödünç
**bibore** *b* afedin, pardon
**bi borebor** *h* böğüre böğüre (insanlar için; bağıra bağıra)
**biborin** *b* afedin, afedersiniz * **biborin, ez vê napejirînim** afedersiniz, bunu kabul etmem
**biborîk** *rd* borikli
**bi borînî** *h* böğüre böğüre (insanlar için; bağıra bağıra)
**biborxî** *rd* vidalı
**bibostan** *rd* **1.** bostanlı **2.** *mec* memeli
**biboyax** *rd* **1.** boyalı **2.** boyalı (kadın için, yüzüne çok boya sürmüş olan, makyajlı)
**bibriyantîn** *rd* briyantinli
**bibromur** *rd* bromürlü
**biburs** *rd* burslu
**bi bûdelayî** *h* budalaca
**bibûut** *rd* boyutlu
**bibûxar** *rd* buharlı
**bibûyer** *rd* olaylı
**bicabil** *rd* harçlı * **dîwarê bicabil** harçlı duvar
**bicam** *rd* camlı
**bicamekan** *rd* camekânlı * **dukana bicamekan** camekânlı dükkan
**bican** *rd* **1.** canlı **2.** *m* canlı (yaşayıp yer değiştirebilen yaratık, hayvan)
**bi canê xwe dan** *l/bw* canıyla ödemek
**bi cara Xwedê** *h* tümden, komple
**bi carcarokî** *h* çığırtkanca
**bi carek** *h* bir kalemde, birden ve toptan
**bi carekê** *h* tamamıyla, kapı kapamaca, komple * **ew bi carekê dînikî ne** onlar kapı kapamaca delidirler
**bicas** *rd* kireçli
**bicatirî** *rd* kekikli
**bi cebrî** *h* cebren
**bicedêl** *rd* didişken
**biceger** *rd* yürekli
**bicegerbûn** *m* **1.** yürekli olma **2.** yüreklilik
**bi ceger bûn** *l/bw* yüreklenmek, yürekli olmak
**bicegerî** *m* yüreklilik
**bi ceh ketin** *l/bw* arpalamak
**bi cehenemê şad bûn** *l/bw* cehennemi boylamak (gebermek)
**bi cehenemê şad kirin** *l/bw* cehenneme göndermek (gebertmek)
**bicehter** *rd* kekikli
**biceld** *rd* ciltli (kitap vb. için)
**bicelxe** *rd* **1.** geçirmeli **2.** yivli (ek çizgisi olan)
**bi cemaetî** *h* cemaatle ~ **nimêj kirin** cemaatle namaz kılmak
**bicemed** *rd* buzlu
**bicencer** *rd* makaralı
**bicer** *rd* vidalı
**bicereyan** *rd* akıntılı, akımlı
**bicerg** *rd* yürekli, cesur
**bicesaret** *rd* **1.** cesaretli **2.** *h* yüreklilikle ~ **bûn** cesaretlenmek ~ **kirin** cesaretlendirmek
**bicesaretbûn** *m* **1.** cesaretlilik, cesaretli olma **2.** cesaretlenme, yüreklenme, yiğitlenme, yiğitleşme
**bi cesaret bûn** *l/bw* cesaretlenmek, yüreklenmek, yiğitlenmek, yiğitleşmek
**bicewab** *rd* cevaplı, yanıtlı
**bicewher** *rd* cevherli
**bicewî** *rd* tutkallı
**biceyr** *rd* sıvalı (sıvası olan)
**bi cezbê ketin** *l/bw* kendinden geçmek, transa geçmek (tarikat ehli için)
**bicênîk** *rd* zülüflü
**bicibe** *rd* cüppeli
**bicih** *rd* **1.** yerinde, uygun **2.** kesin, kat'i * **ma tu bicih dizanî ku dê were?** geleceğini kesin biliyor musun?
**bicihanîn** *m* **1.** gerçekleştirme **2.** icra etme,

uygulama 3. ifa etme 4. *hiq* yürütüm, yerine getirme, infaz 5. eda etme
**bi cih anîn** *l/bw* 1. gerçekleştirmek 2. icra etmek, uygulamak 3. ifa etmek 4. yerine getirmek, infaz etmek 5. eda etmek
**bicihbûn** *m* 1. yerleşme 2. yerleşme (yerine iyice oturma) 3. yerleşme (yer bulup oturma) 4. yerleşme (eşyayı yerli yerine koyma) 5. yerleşme (kullanılır olma, alışılma) 6. sığma 7. yurtlanma
**bi cih bûn** *l/bw* 1. yerleşmek (yaşamak için uygun yer bulmak) * **çûne li semteke xweş bi cih bûne** gidip güzel bir semte yerleşmişler 2. yerleşmek (yerine iyice oturmak) * **ev kevir tê de bi cih bû** bu taş yerine yerleşti 3. yerleşmek (yer bulup oturmak) * **bi zorekê di erebeyê de bi cih bûn** arabaya zor yerleştiler 4. yerleşmek (eşyayı yerli yerine koymak) * **hîna têkberên wan bi cih nebûne** eşyaları daha yerleşmemiş 5. yerleşmek (kullanılır olmak, alışılmak) * **hin peyv bere bere bi cih dibin** bir takım kelimeler zamanla yerleşiyor 6. sığmak 7. yurtlanmak 8. (eli) ağır olmak * **kulmên wî bi cih bûn** yumrukları ağırdılar
**bicihbûnî** *m* 1. yerleşmişlik 2. oturmuşluk
**bicihbûyî** *rd* yerleşik
**bicihêtname** *rd* pusulalı
**bicihêz** *rd* çeyizli
**bi cihêz bûn** *l/bw* çeyizlenmek
**bicihhatin** *m* 1. gerçekleşme, yerine gelme 2. uygulanma
**bi cih hatin** *l/bw* 1. gerçekleşmek, yerine gelmek 2. uygulanmak
**bicihhiştin** *m* terketme
**bi cih hiştin** *l/bw* terketmek
**bicihime!** *b* defol!, cehennem ol!
**bicihker** *rd* yerleştirici
**bicihkirin** *m* 1. yerleştirme 2. yerleştirme (yerine koyma) 3. sığdırma 4. yurtlandırma
**bicihkirin** *l/bw* 1. yerleştirmek 2. yerleştirmek (yerine koymak) 3. sığdırmak 4. yurtlandırmak
**bicihkirî** *rd* yerleşik, yerleştirilmiş
**bi cih lê xistin** *l/bw* fena vurmak
**bicihnebûyî** *rd* eğreti (iyi yerleşmemiş, yerini bulmamış)
**bicihnuma** *rd* pusulalı
**bi cih û nivîn bûn** *l/bw* yatmak (hastalık sebebiyle yatakta kalmak)
**bi cih û war bûn** *l/bw* yurtlanmak
**bicihûwarkirin** *m* yurtlandırma
**bi cih û war kirin** *l/bw* yurtlandırmak
**bicil** *rd* elbiseli, giyinik ~ **û berg** giyimli, giyimli kuşamlı * **yekî bicil û bergên baş** e iyi giyimli biri ~ **û girêdan** giyimli kuşamlı
**bicilbûn** *m* giyinik olma, giyimlik
**bicilik** *rd* çullu
**bicils** *rd* kireçli * **ava bicils kireçli su**
**bicilûberg** *rd* elbiseli, kostümlü
**bicimbiş** *rd* 1. eğlentili 2. cümbüşlü
**bicin** *rd* cinli
**bicinan ketin** *l/bw* cin çarpmak
**bicinsiyet** *rd* eşeyli
**bicinsiyetî** *m* eşeylilik
**bicir** *rd* geçimsiz * **mirovekî bicir e** geçimsiz bir insan ~ **û cedêl** geçimsiz * **mirovekî bicir û cedêl e** geçimsiz bir insan ~ **bûn** geçimsiz olmak
**bicirecir** *rd* şamatalı
**bicirne** *rd* kurnalı
**bi cirnexweşî** *h* gıcıkça, huysuzca
**bi ciwamêrî** *h* centilmence
**bi ciwanî** *h* genç bir şekilde
**bi ciwanmêrane** *h* kibarlıkla
**bicizûbend** *rd* 1. ciltli 2. kapaklı
**bicîger** *rd* cesur, yürekli
**bicîla** *rd* cilâlı
**bicîsmbûn** *m* cisimlenme
**bicîsm bûn** *l/bw* cisimlenmek
**bi cîsmî** *h* cismen
**bicîwa** *rd* cıvalı
**bicolane** *rd* salıncaklı
**bi comerdî** *h* cömertçe
**bi copan lê dan** *l/bw* coplamak
**bi copan lê xistin** *l/bw* coplamak
**bicoş** *rd* çoşkun
**bi coşbûnî** *h* coşkunca
**bi coşdarî** *h* 1. çoşkulu bir şekilde 2. kabara kabara
**bi coş û peroş bûn** *l/bw* coşkulanmak
**bi coş û peroşî** *h* coşkunca
**bicoşûperoş** *rd* coşkulu
**bicotê** *h* iki ayakla zıplama
**bi cotkaniyan** *h* çiftelemeyle ~ **çûn hev** çifteleşmek ~ **li hev xistin** çifteleşmek
**bicuret** *rd* cüretli
**biç** *bnr* xulç
**biçal** *rd* çukurlu ~ **û kort** çukurluk ~ **û mirt** (an jî **mitik**) girintili, girintili çıkıntılı, engebeli
**bi çalakî** *h* 1. aktifce 2. kıvrakça
**biçamûr** *rd* çamurlu
**biçanç** *rd* tortulu
**biçangil** *rd* kancalı
**bi çapikî** *h* süratla
**biçaplûkan** *h* emekleyerek
**bi çaplûkan çûn** *l/bw* emeklemek
**bi çaplûsî** *h* dalkavukça, şaklabanca
**biçaq** *rd* bacaklı
**biçaqmaq** *rd* 1. çakmaklı 2. çakmaklı (eski bir tüfek türü)
**biçarçîve** *bnr* biçarçove
**biçarçove** *rd* çerçeveli
**bi çargavê** *h* dört nala, dolu dizgin (son hızla) ~ **çûn** dört nala (veya dolu dizgin) gitmek
**biçarik** *rd* çarıklı, çatılı, **çatkılı**
bi çarlepkan *h* emekleyerek

**bi çarlepkan çûn** *l/bw* emeklemek
**bi çarlepkan ketin** *l/bw* emeklemeye başlamak
**bi çarnalê** *h* dört nala
**biçaroke** *rd* çarşaflı (kadın çarşafı)
**biçarox** *rd* çarıklı
**bi çarqewzê** *h* dolu dizgin (son hızla) ~ **çûn** dolu dizgin gitmek (son hızla koşmak)
**biçarşeb** *bnr* çarşev
**biçarşev** *rd* çarşaflı (çarşaf giymiş olan kimse)
**biçarwe** *rd* zilli (parmaklara takılan müzik aleti için)
**biçav** *rd* gözlü
**bi çavan** *h* **1.** göz ile **2.** çıplak gözle
**biçavan ketin** *l/bw* göz hastalığına yakalanmak
**biçavdîtî** *h* gözle görülür, gözle görülecek bir şekilde
**bi çavgirtî** *h* gözü kapalı olarak
**biçavik 1.** gözlü (bölmesi veya gözleri olan) **2.** gözlü (deliği olan) **3.** gözenekli
**biçavî** *rd* **1.** gözlü (bölmesi veya gözleri olan) * **maseya bi sê çavî** üç gözlü masa **2.** gözlü (deliği olan) **3.** gözenekli, ajurlu
**bi çavîtî** *h* göz kararıyla
**biçax** *rd/h* zamanlı
**biçay** *rd* çaylı
**biçayir** *rd* çayırlı, çimenli
**bi çayirê ketin** *l/bw* çayırlamak (hayvan, yediği çayırdan hastalanmak)
**biçek (I)** *rd* elbiseli
**biçek (II)** *rd* silâhlı
**biçekbûn** *m* **1.** silâhlanma **2.** silâhlanma (silâhını veya silâhlı kuvvetlerini çoğaltma)
**biçek bûn** *l/bw* **1.** silâhlanmak **2.** silâhlanmak (silâhını veya silâhlı kuvvetlerini çoğaltmak)
**biçekembûn** *m* ağdalanma, ağda bulaşma
**biçekem bûn** *l/bw* ağdalanmak, ağda bulaşmak
**biçekkirin** *m* **1.** silâhlama, silâhlandırma **2.** silâhlandırma (silâhını veya silâhlı kuvvetlerini çoğaltma)
**biçekkirin** *l/bw* **1.** silâhlamak, silâhlandırmak **2.** silâhlandırmak (silâhını veya silâhlı kuvvetlerini çoğaltmak)
**biçekkirin** *m* silâhlandırma
**biçekkirî** *rd* silâhlı (silâhlandırılmış olan)
**bi çelengî** *h* kıvrakça
**bi çelpînî** *h* lâppadak
**biçelqeçelq** *rd* çırpıntılı
**biçelqînî** *rd* çırpıntılı
**biçeltik** *rd* çantalı
**biçember** *rd* çemberli
**biçembil** *rd* kulplu
**biçembilheya** *rd* kuşaklı
**bi çendan** *nd* kaça * **ev pirtûk bi çendan e?** bu kitap kaça?
**biçene** *rd* çeneli, çenesi olan
**bi çengan** *h* avuç avuç
**biçengel** *rd* çengelli
**biçengil** *rd* kancalı
**biçengur** *rd* kollu
**biçente** *rd* çantalı
**biçentik** *rd* çantalı
**biçep** *rd* kıvrak, hilekâr
**biçepil** *rd* kollu
**biçeprastê** *sp/h* göğüs çaprazı
**biçeqîn** *rd* çatırtılı, şakırtılı
**biçerm** *rd* derili
**biçerx** *rd* çarklı
**bi çerx** *h* döne döne, dönerek
**biçeşîd** *rd* çeşitli
**biçeşîdbûn** *m* çeşitlenme
**bi çeşîd bûn** *l/bw* çeşitlenmek
**biçeşîdîtî** *m* çeşitlilik
**biçeşîdkirin** *m* çeşitleme, çeşitlendirme
**bi çeşîd kirin** *l/bw* çeşitlemek, çeşitlendirmek
**biçetel** *rd* çatallı (çatallı olan, yemek aracı için)
**biçetînayî** *h* güçlükle
**biçewder** *rd* çavdarlı
**biçewlik** *rd* imalı
**bi çewtî** *h* yanlışlıkla, yanlış olarak
**biçexdar** *rd* çavdarlı
**biçêj** *rd* lezzetli, leziz
**biçêjbûn** *m* lezetlenme
**biçêj bûn** *l/bw* lezetlenmek
**biçêq** *rd* bacaklı
**bi çi** *nd* kaça? ~ **awayî?** ne gibi? ~ **emel dike?** Neci?* **dayê bavê min bi çi emel dike?** anne benim babam neciydi? ~ **mijûl e?** neci ~ **qasî ye?** kaça? ~ **rûyî?** ne yüzle? ~ **zimanî** *h* nece * **ev mêrik bi çi zimanî dipeyîve?** bu adam nece konuşuyor?
**biçiçik** *rd* memeli
**biçilîtk** *rd* çapaklı
**biçilm** *rd* sümüklü
**biçiltûk** *rd* çeltikli
**biçim** *m* bir tür ottan elde edilen göz ilacı
**biçinar** *rd* çınarlı * **koşka biçinar** çınarlı köşk
**bi çindê** *h* seke seke
**biçindik û lotikan** *h* zıplaya zıplaya
**biçindikan** *h* hoplaya hoplaya, seke seke
**bi çindikdanê** *h* hoplaya hoplaya
**biçindikê** *h* atlaya zıplaya, zıplaya zıplaya
**biçindirikan** *h* zıplaya zıplaya
**biçingal** *rd* çengelli
**biçingîn** *rd* çınlamalı
**biçingînî** *rd* tangırtılı
**bi çipeçip çûn** *h* tırıs gitme
**bi çipeçip çûn** *l/bw* tırıs gitmek
**biçipik** *rd* uçlu
**bi çipikî** *h* çevikçe
**biçiqil** *rd* dallı
**biçiqlik** *rd* budaklı (sürgünlü ağaç)
**biçira** *rd* çıralı
**biçiranek** *rd* oluklu
**biçirax** *rd* çıralı, fenerli
**biçirik (I)** *bnr* biçirk

**biçirik (II)** *rd* makaralı
**biçirîn** *rd* gıcırtılı
**biçirîsk** *rd* kıvılcımlı
**biçirk** *m* küçük topaklar şeklindeki mayasız hamurun kızgın yağda kızartılarak yapılan bir tür ekmek
**biçirkeçirk** *rd* **1.** çatırtılı **2.** cızırtılı (kalemle bir şey yazılırken)
**biçirkîn** *rd* çatırtılı
**biçirkînî** *rd* gıcırtılı
**biçirtik** *rd* oluklu
**biçirtonek** *rd* oluklu
**biçirûsk** *rd* **1.** kıvılcımlı **2.** ışıltılı
**biçistî** *rd* disiplinli
**biçivîd** *rd* çivitli
**biçix** *rd* çuhalı
**biçixêz** *rd* çizgili
**bi çixêz bûn** *l/bw* çizgilenmek
**biçixêzik** *rd* çizikli
**bi çiyan ketin** *l/bw* dağlara çıkmak
**bi çiyan xistin** *l/bw* dağlara düşürmek
**biçizeçiz** *rd* cızırtılı (ateşte et pişirilirken)
**biçîçek** *rd* çiçekli
**biçîçekkirin** *m* çiçekleme
**bi çîçek kirin** *l/bw* çiçeklemek (çiçeklerle bir yeri süslemek)
**biçîçikî** *rd* **1.** azıcık, birazcık **2.** tırnak kadar, bir damla (çocuk için çok küçük) * **tu li kirên vî biçîçikî binêre** bir damla çocuğun yaptıklarına bak
**biçîk** *rd* **1.** zarplı, etkisi güçlü olan **2.** kıvılcımlı
**biçîkene** *rd* çiğitli
**biçîldank** *rd* kursaklı
**biçîm (I)** *rd* çimli
**biçîm (II)** *rd* bacaklı
**biçîmen** *rd* çimenli
**biçîmik** *rd* bacaklı
**biçîmkirin** *m* çimlendirme
**biçîm kirin** *l/bw* çimlendirmek
**biçîn** *rd* işlemeli
**biçînçolek** *rd* salıncaklı
**biçînî** *rd* çinili
**biçîp** *rd* bacaklı
**biçîtik** *rd* başörtülü
**biçkok** *rd* ufak, küçücük
**bi çogan** *h* çomak ile ~ **lê xistin (an jî dan)** çomaklamak
**bi çolan ketin** *l/bw* çöllere düşmek
**biçolan xistin** *l/bw* çöllere düşürmek
**bi çolbirî** *h* kestirmeden
**biçop** *rd* çöplü
**biçoratan** *rd* oluklu
**biçortî** *h* kabaca, kaba kaba
**biçov** *rd* sopalı
**bi çov lê dan** *l/bw* sopa atmak (veya çekmek)
**bi çov lê xistin** *l/bw* sopa atmak (veya çekmek)
**biçrik** *m* yağda kızartılan ekmek
**biçûçan** *rd* ufak tefek
**biçûçanî** *h* ufak tefekçe
**biçûçanik** *rd* ufak tefek
**biçûçik** *rd* **1.** küçücük, küçümen **2.** küçük (büyümesini, gelişmesini henüz tamamlamamış olan) ~ **û qupikan ve** çoluk çocuk hepsi
**biçûçikî** *rd* **1.** ufak, ufacık, ufakça, ufarak, küçükçe, küçücükçe, küçümencik * **mala biçûçik** ufak ev * **li qata jor odeyeke biçûçikî heye** üst katta ufarak bir oda var **2.** avuç içi kadar (pek küçük, dar yer) **3.** ufak tefek (değersiz, önemsiz)
**biçûçiktî** *m* ufaklık
**biçûçok** *rd* küçücük, küçürek
**biçûçokî** *rd* küçücükçe, küçürek
**biçûk** *rd* **1.** küçük, ufak (boyutları benzerlerinden daha ufak olan, büyük karşıtı) * **xaniyê biçûk** küçük ev **2.** küçük (eni, boyu az) * **destmala biçûk** küçük mendil **3.** küçük, ufak (yaşça daha küçük olan) * **ez ji wê biçûktir im** ben ondan daha küçüğüm **4.** küçük (niteliği aşağı olan) * **zilamekî biçûk** küçük bir adam **5.** küçük ufak (makam, derece bakımında geri olan) * **karmendeke biçûk** küçük bir memur **6.** küçük (üstün yeteneği olmayan) * **nivîskarekî biçûk** küçük bir yazar **7.** *mec* ufak, küçük (önemsiz) * **bi emeliyatekî biçûk tu dê xelas bibî** ufak bir ameliyatla kurtulacaksın ~ ~ küçük küçük ~ **bûn heycar mezin kirin** bire bin katmak (çok abartmak) ~ **dîtin** küçük görmek **(yek)** ~ **dîtin** (birini) küçük görmek, aşağı görmek, aşağısamak ~ **hatin dîtin** küçümsenmek ~ **ketin** küçük düşmek ~ **li ba mezinan divê pêdirêjî (an jî destdirêjî) nekin** atlar nallanırken kurbağalar ayak uzatmaz ~ **li mezinan dinêrin** imam osurursa cemaat sıçar ~ **li rêça mezinên xwe diçin** baş nereye giderse, ayak da oraya gider ~ **pêl rêça mezinên xwe dikin** arabanın ön tekerleği nereden geçerse art tekerleği de ordan geçer ~ **rayê mezinan nakin** atlar nallanırken kurbağalar ayak uzatmaz ~ **û mezin** irili ufaklı ~ **xistin** küçük düşürmek **(yek)** ~ **xistin** (birini) küçük düşürmek **(li)** ~**an xeta li mezinan efû** su küçüğün, söz büyüğün ~**ê li (cihekî) mezin bûme** doğma büyüme * **ez biçûkê ku li Amedê mezin bûme** doğma büyüme Amedliyim
**biçûkahî** *bnr* biçûkayî
**biçûkanî** *m* küçüklük
**biçûkatî** *m* küçüklük
**biçûkayî** *m* küçüklük
**biçûkbaz** *nd/nt* sübyancı
**biçûkbazî** *m* sübyancılık
**biçûkbûn** *m* **1.** küçükleşmek, ufalma (ufak duruma gelme) **2.** küçülme **3.** *mec* küçülme, küçüklük (insana yakışmayacak, insanın değerini düşüren davranış)
**biçûk bûn** *l/ngh* **1.** küçükleşmek, ufalmak **2.** küçülmek **3.** *mec* küçülmek, küçükleşmek

(değerini yitirmek)
**biçûkbûyîn** *m* küçülüş
**biçûkdîtin** *m* küçümseme, küçümseyiş, hafifseme, hafifseyiş
**biçûk dîtin** *l/gh* küçümsemek, hafifsemek * **tu car neyarên xwe biçûk mebînin** düşmanlarınızı hiçbir zaman hafifsemeyin
**biçûkdîtî** *rd* hor görülmüş, küçümsenmiş olan
**biçûkî** *m* **1.** küçüklük **2.** *mec* küçüklük (insana yakışmayacak, insanın değerini düşüren davranış)
**biçûkîtî** *m* küçüklük ~ **dibêje hêk, mezin dibe dibêje papê** büyüdükçe gerizekalı oluyor
**biçûkî xwe dîtin** *l/bw* küçüksemek
**biçûkker** *rd* küçültücü
**biçûkketin** *m* aşağılaşma
**biçûk ketin** *l/ngh* aşağılaşmak
**biçûkketî** *rd* aşağılaşmış olan
**biçûkkirin** *m* **1.** küçültme **2.** ufaltma **3.** *mec* küçültme (onurunu azaltma) **4.** küçültme (yaşını gizleyerek küçük gösterme) **5.** *rz* küçültme
**biçûk kirin** *l/gh* **1.** küçültmek * **şal biçûk kir** pantolonu küçülttü **2.** ufaltmak **3.** *mec* küçültmek (onurunu azaltmak) **4.** küçültmek (yaşını gizleyerek küçük göstermek)
**biçûkkirî** *rd* küçültülmüş, ufaltılmış
**biçûçok** *rd* küçürek
**biçûkokî** *rd* küçücükçe, küçürek
**biçûkoyî** *rd* küçürek
**biçûktayî** *m* **1.** küçüklük **2.** *mec* küçüklük (insana yakışmayacak, insanın değerini düşüren davranış)
**biçûktirîn** *rd* maksimum
**biçûktî** *m* küçüklük
**biçûkxistin** *m* aşağılama, aşağılatma, küçük düşürme, hor görme, tahkir etme
**biçûk xistin** *l/gh* aşağılamak, aşağılatmak, küçük düşürmek, hor görmek, tahkir etmek * **ma ne heyf e, te çima zilam biçûk xist?** yazık değil mi, niye adamı aşağıladın?
**biçûkxistî** *rd* küçük düşürülmüş
**biçûl** *rd* çullu
**biçûlek** *rd* küçücük
**biçûnehat** *rd* işlek * **riya biçûnehat** işlek yol
**biçûnehatî** *m* işleklik
**biçûnok** *rd* küçücük
**bidab** *rd* gelenekli
**bidaçek** *rz/rd* edatlı, ilgeçli
**bidahat** *rd* gelirli, hâsılatlı
**bidahk** *rd* iddialı
**bi damanî** *h* dalgınca
**bidamar** *rd* damarlı
**bidamezirak** *rd* kurumlu, müesseseli
**bidamezrakbûn** *m* kurumlaşma, müesseseleşme
**bi damezirak bûn** *l/bw* kurumlaşmak, müesseseleşmek
**bidamezirakkirin** *l/bw* kurumlaştırma
**bi damezirak kirin** *l/bw* kurumlaştırmak
**bidamezirawe** *rd* kurumlu, müesseseli
**bidamezrawe bûn** *l/bw* kurumlaşmak
**bidamezrawe kirin** *l/bw* kurumlaştırmak
**bidamper** *rd* damperli
**bidamusk** *rd* yeleli
**bidantêl** *rd* dantelli, dantelâlı
**bi daqurtinî** *h* yutularak, dahilen (ilâç için)
**bidar** *rd* **1.** ağaçlı **2.** sopalı
**bi daran lê dan** *l/bw* sopa atmak (veya çekmek)
**bi daran lê xistin** *l/bw* sopa atmak (veya çekmek)
**bi darbûn** *l/bw* ağaçlanmak
**bi darda bûn** *bnr* bi dar de bûn
**bidar da kirin** *bnr* bi dar de kirin
**bidardakirî** *bnr* bidardekirî
**bidardarok** *rd* sarkaçlı, rakkaslı
**bidardebûn** *m* asılma
**bidarde bûn** *l/bw* asılmak
**bidardekirin** *m* **1.** asma **2.** sarkıtma (sallandırma, asma) **3.** asma, (asarak) idam etme, sehpaya çekme
**bi dar de kirin** *l/bw* **1.** asmak **2.** sarkıtmak (sallandırmak, asmak) **3.** asmak, (asarak) idam etmek, sehpaya çekmek (bir kimseyi boğazından ip geçirip sarkıtarak öldürmek)
**bidardekirî** *rd* **1.** asılı **2.** asılmış, idam edilmiş olan
**bidarezû** *h* pekçe
**bi darê zorê** *h* zorla, metazori, çatır çatır (zor kullanarak, baskı yaparak)
**bidarik** *rd* sopalı
**bi darik** *h* çomak ile ~ **lê xistin (an jî dan)** çomaklamak
**bi darî hev ketin** *l/bw* yüzleşmek, yüzyüze gelmek, karşı karşıya gelmek * **ez dikarim her tim em bi darî hev bikevim** ben onunla her zaman yüzleşebilirim
**bi darî hev kirin** *l/bw* yüzleştirmek, karşı karşıya getirmek
**bidarî ketin** *l/bw* görüşmek
**bidarkirin** *m* ağaçlandırılma
**bi dar kirin** *l/bw* ağaçlandırmak
**bidartest** *rd* topuzlu
**bidartûn** *rd* makaralı
**bidarû** *rd* ilâçlı
**bidarvekirin** *l/bw* asmak
**bidarvekirî** *rd* asılı
**bidarxûn** *rd* kapaklı
**bidasî** *rd* kılçıklı
**bidaw** *rd* peşli
**bidawet** *rd* düğün dernekli
**bidawî** *rd* bitimli, sonlu
**bidawîanîn** *m* **1.** sonuçlandırma, noktalama **2.** sonuç alma **3.** sonuçlama, sona erdirme
**bi dawî anîn** *l/bw* **1.** sonuçlandırmak, noktalamak **2.** sonuç almak **3.** sonuçlamak, sona erdirmek
**bidawîbûn** *m* **1.** sonuçlama, neticelenme **2.** son

**bi nebezî** *rd* yavuzca
**bi nebîrbirî** *h* anlayışsızca, düşüncesizce
**bi nebîrewerî** *h* anlayışsızca, düşüncesizce
**binecih** *rd/nd* **1.** yerli (oturduğu bölgede doğup büyüyen, ataları da orada yaşamış olan kimse) **2.** *n* yerleşeme yeri, oturaklı yer
**binecihîbûn** *m* yerlileşme
**binecihî bûn** *l/ngh* yerlileşmek
**bineci** *bnr* binecih
**bineco** *m* ark dibi
**bi neçarî** *h* mecburen
**bineçe** *n* **1.** temel, ana **2.** temel, esas (bir yapının toprak altında kalan ve yapıya dayanak olan duvar, taban vb. bölümlerinin tümü) **2.** temel (bu bölümleri yapmak için kazılan çukur) **3.** köken (soy, asıl)
**bineçerm** *ant/m* alt deri, deri altı
**bineçîn** *m* alt sınıf
**binedar** *m* ağaç kökü
**binederya** *m* deniz dibi
**bi nefehmatî** *h* anlayışsızca, düşüncesizce, izansızca
**binefes** *rd* nefesli
**binefs** *rd* nefis sahibi
**bi nefs** *nd/h* tıpatıp, tıpkı * **ew bi nefs e** tıpatıp kendisi ~**a xwe nekarîn** nefsine hakim olmamak, nefsine uymak ~**a xwe nesekinîn** nefsine düşkün olmak
**bi nefs bûn** *l/bw* tıpa tıp olmak, ta kendisi gibi olmak * **ew bi nefs e** o ta kendisi
**binefser** *lşk/n* astsubay
**binefserî** *lşk/m* astsubaylık
**binefş** *bnr* binevş
**binefşe** *bnr* binevş
**binefşî** *bnr* binevşî
**binefşok** *bnr* binevşok
**binegeh** *n* temel, esas
**binegoş** *n* kulak altı
**bineguh** *bj/m* **1.** kaba kulak **2.** kulak altı
**bi neheqî** *h/rd* haksızca * **hûn bi neheqî bi min re dikin** bana haksızca davranıyorsun
**binehiş** *m* bilinçaltı, şuur altı
**binehişî** *m* bilinç altı
**binehişîn** *rd* bilinç altı ile ilgili
**binehk** *rd* nohutlu
**bi nehsî** *h* haylazca
**binejimar** *mat/m* asal sayı
**binekirin** *m* saklama
**bine kirin** *l/gh* saklamak
**binekok** *m* arka plan, bekraund
**binekomik** *m* alt grup
**binelem** *rd* tepeli
**binelî (I)** *m* bünye (vücut yapısı)
**binelî (II)** *rd* yerleşik (bir yerin yerlisi olmuş olan)
**binelîtî** *m* yerleşiklik
**binema** *m* temel, esas
**binemak** *m* kök, temel
**binemal (I)** *n* ana mal
**binemal (II)** *m* **1.** aile (çok geniş aile) **2.** aile (birlikte oturan hısım ve yakınların tümü) **3.** sülale, uruk **4.** *sos* boy, kabile, klân ~**a xuyanî** köklü aile
**binemale** *bnr* binemal
**binemalî** *rd* ailevî
**binemerg** *m* sulu otlak
**binemir** *rd* emir kulu
**bineqerat** *rd* nakaratlı
**bi neqlî** *h* naklen
**bineqş** *rd* nakışlı, işlemeli
**binequl** *rd* **1.** dibi delik **2.** *argo* kızlığı elden gitmiş olan, bekareti bozulmuş olan
**binerd (I)** *n* **1.** yeraltı **2.** *rd* yeraltı (gizli ve zararlı çalışma) ~ **bûn** *mec* ölmek
**binerd (II)** *nd* toprağa gömülü ev
**binerd (III)** *m* yer fıstığı
**binerdco** *m* yeraltı kanalı
**binerdik** *bot/m* **1.** şalgam (Brassica rapa) **2.** şalgam (bu bitkinin besin olarak kullanılan etli ve tatlı kökü)
**binerdî** *bot/m* **1.** yer elması (Helianthus tuberosus) **2.** yer elması (bu bitkinin besin oylarak yararlanılan kök sapı)
**binerdîn** *rd* toprak altı
**binerdk** *bnr* binerdik
binerdkirin *m* gömme, gömüleme, defnetme (ölüyü gömme)
**binerd kirin** *l/gh* gömmek, gömülemek, defnetmek
**binerdkirî** *rd* gümülü
**bineret** *m* temel, ana
**binaretî** *m* temel
**bi nerihetî** *h* yaramazca
**bi nermahî** *h* çaktırmadan, usulca
**bi nermenerm** *h* usulcacık
**bi nermenermî** *h* usullacık
**bi nermetingî** *h* sinsice
**bi nermikayî** *h* usulcacık
**binermî** *h* çaktırmadan, usulca ~ **mirov maran ji qulê derdixe** tatlı dil yılanı deliğinden çıkarır
**binesaziyî** *rd* alt yapısal
**binesazî** **1.** altyapı (bir yapı için gerekli olan yol, kanalizasyon, elektrik, su gibi tesisatların hepsi) **2.** *sos/m* alt yapı **3.** yapı, bünye
**binesermaye** *m* ana sermaye
**binesîb** *rd* nasipli ~**ê (yekî) kirin** (birine) nasip etmek
**binesîhet** *rd* nasihatlı
**bi nesîhetan** *h* nasihat yolu ile
**binesol** *m* ayakkabı tabanı
**bineşax** *m* alt şube
**bineşe** *bnr* bineçe
**binetar** *erd/n* **1.** dağ eteği **2.** temel, esas **3.** *mec* köken, soy sop
**binetarî** *rd* asıl, temel, çekirdek * **kadroya binetarî** çekirdek kadro
**binetatî** *m* razakı (bir tür üzüm)

**binetîm** *m* alt takım
**binetîp** *m* alt takım
**binetov** *n* tohumluk, ana tohum
**binevan** *rd* varlıklı
**binevş** *bot/m* 1. menekşe (Viola tricolor) 2. menekşe (bu bitkinin çiçeği)
**binevşa belek** *bot/nd* hercaî menekşe (Viola tricolor)
**binevşa seg** *bot/nd* yabanî menekşe
**binevşgon** *rd* menekşe rengi
**binevşî** *nd* 1. menekşe rengi 2. *rd* menekşe rengi (bu renkten olan)
**binevşîn** *rd* menekşe renkli, menekşeye benzeyen
**binevşok (I)** *bot/m* 1. menekşe (Viola tricolor) 2. menekşe (bu bitkinin çiçeği)
**binevşok (II)** *bj/m* kızılcığa benzer fakat rengi menekşeye çalan öldürücü bir hastalık ~ **avêtin (yekî)** bu hastalığa yakalanmak
**binexş** *rd* nakışlı, işlemeli ~ **û nimûş** cicili bicili
**bi nexweşînê ketin** *l/bw* hastalanmak, hastalığa tutulmak
**bineynik** *rd* aynalı
**bineynok** *rd* tırnaklı
**binezaket** *rd* nezaketli
**binezanav** *n* alt kimlik
**bi nezanî** *h* 1. cahilâne, cahilce, bilmeden * **bi nezanî min xwe avête vî karî** bilmeden bu işe giriştim 2. kasıtsız, maksatsız
**binezir** *rd* adaklı * **diya min bi sê rojan ji rojiyê re binezir e** annem oruca üç gün adaklı
**binferman** *rd* ezilen
**binfis** *argo/rd* sinsi, kurnaz
**binê** *b* aman (dikkatı uyandırmak için kullanılır) * **binê, baş li zarokê binêrî** aman çocuğa iyi bak
**binê avê** *nd* su altı
**binê çeng** *nd* koltuk altı
**binê çermê jorîn** *ant/nd* üst deri altı
**binê xwe tije kirin** *l/bw* 1. donuna yapmak (veya doldurmak) 2) donuna yapmak, donuna doldurmak (çok korkmak)
**binêre** *b* 1. bak 2. bak! (işte) * **binêre ev gotinên te rast in** bak bu söylediklerin doğru
**binêşe** *bnr* bineçe
**binfilitî** *rd* kaba saba (kimse)
**bing kirin** *l/gh* çağırmak
**bingaşe** *rd* kalabalık
**bingeh** *m* 1. temel, esas, ana (bir şeyin gelişimi için gereken ilk öğeler) * **divê ku mirov li ser bingehên xurt tiştên mezin çêke** sağlam temellere dayanarak büyük işler yapmalı * **ez dê jîna xwe li ser bingehên nû ava bikim** ben hayatımı yeni esaslar üzerine kuracağım 2. altyapı (bir yapı için gerekli olan yol, kanalizasyon, elektrik, su gibi tesisatların hepsi) 3. *sos* alt yapı ~ **amade kirin** zemin hazırlamak ~ **girtin** temel tutmak ~**a tenduristiyê** sağlık ocağı ~**ên hesêb** dört işlem
**bingehdanîn** *m* tesisetmek
**bingeh danîn** *l/gh* tesis etmek, tesis oluşturma
**bingehdar** *nd/nt* 1. kurucu, müessis 2. *rd* temelli, esaslı
**bingehdarî** *m* kuruculuk
**bingehdêr** *rd* kurucu
**bingehdêrî** *m* kuruculuk
**bingehî** *rd* 1. ana, esasî, asıl, temel (en önemli, belli başlı) * **qanûna bingehî ya dewletê makeqanûn e** devletin temel kanunu anayasadır * **kadroya bingehî** temel kadro 2. aslî * **peywira me ya bingehî** aslî görevimiz 3. bünyevi 4. köklü
**bingehîn** *rd* 1. temel, ana * **xetên bingehîn** ana hatlar 2. birincil, esas 3. *h* başlıca * **rexnekirin mafekî bingehîn î xwendevan e** eleştirme her okurun başlıca hakkıdır
bingehmal *m* aile
**bingehmalî** *rd* ailesel
**bingehsaz** *rd* kurucu
**bingehsazî** *m* kuruculuk
**bingerî** *m* soruşturma
**bingêre** *nd* döveni sonda çeken öküz
**bingilte** *rd* fesat
**bingok** *bj/m* kaba kulak
**bingol kirin** *l/gh* ortadan kaldırmak
**bingorkirin** *m* defnetme
**bingor kirin** *l/gh* defnetmek
**bingov** *m* ağıl
**bingovend** *nd* halay sonunu çeken kimse
**bingoyî** *rd* kaba kulak hastalığı olan kimse
**bingozele** *bot/m* sepet yapımında kullanılan bir bitki
**binguhk** *bj/m* kaba kulak
**binguhkî** *rd* kaba kulaklı olan
**binguhkîbûn** *m* kaba kulak olma, kaba kulak hastalığına yakalanma
**binguhkî bûn** *l/ngh* kaba kulak olmak, kaba kulak hastalığına yakalanmak
**binhingil** *n* meme altı
**binhiş** *n* bilinçaltı
**binhişîn** *rd* bilinç altı ile ilgili
**binhizir** *m* bilinç altı
**binhulî** *m* bodrum katı
**biniçik** *rd* çıkıntılı
**biniham** *rd* tabakalı
**bi nihiçan** *h* iteklemeyle, kakışmayla ~ **çûn hev** kakışmak
**binijîn** *m* hapşırma
**binijîn** *l/ngh* hapşırmak
**binik (I)** *m* tütün bitkisinin en alt kısmındaki yaprakları
**binik (II)** *m* 1. altlık, tabakça, tabak (bardak altlığı gibi) * **binika piyaleyê** bardak altlığı 2. ayaklık, duraç, kaide, taban (bir şeyin yere dayanan bölümü veya bir şeyin üzerine

oturtulduğu nesne) * **binikek kir binê peyker** heykelin altına bir kaide koydu **3.** taban, oturak (bir şeyin yere gelen tarafı) **4.** altlık, tabla (soba, mangal gibi şeylerin altına konulan altlık **5.** yapı, bünye
**binika sihanê** *nd* nihale
**binikê ragihanê** *nd* veri tabanı, bilgi tabanı
**biniklok** *rd* kancalı
**binikul** *rd* gagalı ~ **nikulan çûn ser serê (yekî)** (birine) baskı uygulamak ~ **nikulê xwe biçêre bi lingê xwe bigere** kendi derdine kendin çare ol
**binimêj** *rd* **1.** namazlı **2.** *h* namazla ~ **û taet e** namazlı nıyazlı
**binimro** *bnr* binumare
**binimûş** *rd* bezeli, bezekli, nakışlı, motifli
**bi niqilîskan ketin** *l/bw* hıçkırık tutmak
**biniqir** *rd* **1.** boğumlu **2.** yivli
**biniqirk** *rd* kertikli
**biniquçkan** *h* çimdikle, dürderek ~ **çûn (yekî)** birini çimdiklemek ~ **hatin (yekî)** birini çimdiklemek
**binirx** *rd* değerli
**binisîb** *rd* kısmetli
**binişîv** *rd* inişli ~ **û derbejor** (an jî **berjor)** inişli çıkışlı (veya yokuşlu)
**binivîn** *rd* yataklı
**binivîs** *rd* yazılı (üzerinde yazı bulunan) * **kevirî binivîs** yazılı taş
**bi nivîskî** *h* yazılı olarak, tahriren
**biniyat** *bnr* binyat
**biniyet** *rd* **1.** niyetli (niyet eden, niyeti olan) **2.** niyetli (oruçlu) **3.** *h* niyetli olarak **~a şîfayê** şifa niyetine
**binizûl** *rd* kepekli (un kepeği için)
**binî** *m* **1.** alt, dip (oyuk veya çukurun en alt bölümü) **2.** dip (kapalı bir yerin kapıya göre en uzak bölümü) * **maseyên li biniya salonê** salonun dibindeki masalar 3. temel (bir yapının toprak altında kalan ve yapıya dayanak olan duvar, taban vb. bölümlerinin tümü) **4.** kök (temel, esas) * **em dixwazin meseleyê ji binî hel bikin** meseleyi kökünden hal etmek istiyoruz **5.** aşağı (bir şeyin alt bölümü) **6.** taban, ayaklık, duraç (bir şeyin yere dayanan bölümü veya bir şeyin üzerine oturtulduğu nesne) **7.** taban, oturak (bir şeyin yere gelen tarafı) **8.** taban (ayakkabının alt bölümü) **9.** zemin, alt kat **10.** *rd* alt (bir kaç şeyin içinde bize uzak olanı) **11.** *rd* alt (birkaç şeyden yere yakın olanı) * **qata binî** alt kat **(ji)** ~ **de ketinê heta serî safî kirin** (bir servetin) altından girip üstünden çıkmak **(di)** ~ **de pê vedan** alttan güreşmek ~ **derketin** (bir kabın) dibi görünmek ~ **girtin** dibini tutmak (pişen yemekler için; tencerenin dibine yapışmak)
**binîgar** *rd* **1.** resimli **2.** nakışlı, desenli
**binîgarkirin** *m* resimleme
**bi nîgar kirin** *l/bw* resimlemek
**binîgaş** *rd* hayali
**binî girê dan** *l/bw* yumru hale gelmek
**binî girtin** *l/gh* tutmak (yemek için; hafifçe yanmak)
**binîgirtî** *rd* köklü
**binîkah** *rd* nikâhlı
**binîkahbûn** *m* **1.** nikâhlı olma **2.** nikâhlılık
**binîkel** *rd* nikelli
**binîkelaj** *rd* nikelajlı
**binîqaş** *rd* tartışmalı * **gelşeke binîqaş** tartışmalı bir sorun
**binîspet** *rd* oranlı
**binîşan** *rd* **1.** nişanlı, işaretli **2.** belgili, belirtili **3.** belli, muayen **4.** belli başlı
**binîşane** *rd* madalyalı
**binîşanî** *rd/nd* yavuklu
**binîşanîbûn** *m* nişanlanma, adaklanma
**bi nîşanî bûn** *l/bw* nişanlanmak, adaklanmak
**binîşe** *m* temel, esas
**binîtrat** *rd* nitratlı
**bi nîvdevî** *h* yarım ağızla
**binîvî** *rd* **1.** yarım olarak **2.** *h* yarı yarıya
**binîvîbûn** *m* yarılanma
**bi nîvî bûn** *l/bw* yarılanmak
**binîvîkirin** *m* **1.** yarılama **2.** ortalama **3.** yarıcılık yapma
**bi nîvî kirin** *l/bw* **1.** yarılamak * **çaya xwe bi nîvî kiribû** çayını yarılamıştı **2.** ortalamak * **me karê xwe bi nîvî kir** işimizi ortaladık **3.** yarıcılık yapmak
**binîvkerê kujiyê** *mat/nd* açı ortayı
**binîzam** *rd* nizamlı, düzenli
**binîzambûn** *m* nizamlı olma, nizamlılık, düzenlilik
**binîze** *rd* süngülü
**bi nîzeyan** *h* süngü ile
**bi nîzeyan çûn hev** *l/bw* süngüleşmek
**binjinû** *m* diz altı
**binkasik** *m* altlık, tabakça (çay altlığı gibi)
**binkask** *bnr* binkasik
**binkaş** *n* bayır aşağ
**binke** *lşk/m* **1.** üs (harekâtın yürütülebilmesi için gerekli birliklerin, her türlü gereçlerin tamamlandığı, teçhizatın toplandığı, dağıltıldığı bölge) * **binkeya asîmanî** hava üsü **2.** yurt, ocak (hastalıkların tedavi edildiği yer) * **binkeya tenduristiyê** sağlık ocağı (veya yurdu) **3.** *mat* taban, kaide **4.** taban (değerlendirmede en alt derece) **5.** yapı **~ya asayîşî** güvenlik yeri **~ya asîmanî** (an jî **asmanî)** hava üssü **~ya deryayî** deniz üssü **~ya tenduristiyê** sağlık ocağı
**binkefş** *n* koltuk altı
**binkegirtin** *m* üslenme
**binke girtin** *l/gh* üslenmek
**binketin** *m* alt olma yenilgi, mağlûbiyet
**bin ketin** *l/gh* alt olmak, yenilgiye uğramak
**binketî** *rd* yenik, mağlûp, sınık, yenik düşmüş,

bozguna uğramış ~ **hesibandin** yenik saymak
**binkevîk** *bot/m* bir tür gül
**binkeya asayîşî** *nd* güvenlik yeri
**binkeya asîmanî** *nd* hava üssü
**binkeya hewayî** *nd* hava üssü
**binkeyê tenduristiyê** *nd* sağlık ocağı
**binkêr** *rd* kesimlik hayvan
**binkinc** *n* iç çamaşır
**binkinck** *nd* iç çamaşır
**binkiras** *n* **1**. iç gömlek **2**. entari altına giyilen kadın iç giysisi
**binkirask** *n* **1**. iç gömlek, gömlek **2**. entari altına giyilen kadın iç giysisi
**binkî** *rd/nd* **1**. yerli (oturduğu bölgede doğup büyüyen, ataları da orada yaşamış olan kimse) * **ew binkiyên Farqînê ne** onlar Silvan'ın yerlileridir * **ez binkiyê vê derê me** ben buranın yerlisiyim **2**. sinsi (kimse)
**binkîbûn** *m* yerlileşme
**binkî bûn** *l/ngh* yerlileşmek
**binkîne** *m* temel, esas
**binkîs** *nd* hatır akçesi olarak başlıktan kız babası tarafından bağışlanan meblağ
**binkol (I)** *n* çapa
**binkol (II)** *rd* sinsi ~ **bûn** sinsi olmak
**binkolî** *m* sinsilik
**binkolkirin** *m* çapalama
**binkol kirin** *l/gh* çapalamak
**binkom** *bnr* efare
**binkoşk** *m* bodrum, köşkün zemin katı
**binling** *n* ayak altı
**binmêwk** *m* asma çubuğu, asma bıyığı
**binmil** *n* koltuk altı
**binmîtane** *rd* soysuz
**binnivîs** *m* alt başlık
**bi nobe** *h* nöbetleşe
**binobekirin** *m* nöbetleşme
**bi nobe kirin** *l/bw* nöbetleşmek
**binok** *rd* nohutlu * **girara binok** nohutlu pilâv
**binolî (I)** *m* alt kat, zemin katı
**binok (II)** *bot/m* halk hekimliğinde ilaç yapımında kullanılan bir bitki
**binor** *rd* işe yaramaz
**binos** *n* sebep
**binotî** *m* kıyafet (kılık)
**binpenc** *nd* pençe altı
**binpenc kirin** *l/gh* pençesinin altına almak, egemenliğine alınak
**binper (I)** *nd* ilkel bir silâh
**binper (II)** *n* süs teleği
**binpê** *nd* **1**. ayak altı **2**. *n* taban (ayağın alt yüzü)
**binpêkirin** *m* **1**. çiğneme (sayıp takmama) **2**. çiğneme, ihlâl etme, ihlâl * **binpêkirina mafên mirovan** insan hakları ihlâli
**binpê kirin** *l/gh* **1**. çiğnemek (sayıp takmamak) **2**. çiğnemek, ihlâl etmek * **qanûn binpê kirin** kanunları çiğnemek
**binpêkirî** *m* ihlâl edilmiş, çiğnenmiş olan
**binpêlav** *m* ayak tabanı
**binrax** *m* **1**. döşek **2**. şilte
**binrijan** *m* kızlığı, bekareti elden çıkarma, bozma
**binrim kirin** *l/gh* (birinin) mızrağının altından geçmek, üstünlüğünü kabul etmek
**binserk** *nd* gerdek gecesi için gelin ve damat için hazırlanan çerezler
**binsernivîs** *m* alt başlık
**binsêv** *bnr* sêvetehlk
**binsol** *m* ayak tabanı
**binstem** *m* mezalim
**binşe, binşeh** *rd* tarak artığı yün
**binşil** *rd* suçlu, kötü bir eylemde bulunmuş olan
**binta** *nd* tütünün alt kısmındaki en kalitesiz yaprağı
**bintar** *n* **1**. etek, dağ eteği **2**. *mec* temel **3**. aşağı
**bintasik** *m* tabakça
**bintav** *nd* güneş altı, güneşleme
**bintî kirin** *l/gh* hasıraltı etmek
**bintîpe** *m* alt takım
**bintût** *h* kat'iyen
**bintûte** *rd* silik (kimse)
**bintûtî** *rd* kökten * **çareyeke bintûtî pêwîst e** kökten bir çözüm şart **2**. *h* büsbütün, tamamen
**binukte** *rd* nükteli
**binumare** *rd* **1**. numaralı (numarası olan) * **cih binumare ne** yerler numaralı **2**. numaralı (belli bir numarası olan) * **xaniyê binumareya dudu** iki numaralı ev
**binuqte** *rd* noktalı
**binûr** *rd* nurlu
**binûştin** *m* hapşırma
**binûştin** *l/gh* hapşırmak
**binvebinve** *rd* sinsi
**binvebinvebûn** *m* sinsi olma
**binvebinve bûn** *l/ngh* sinsi olmak
**binwêne** *n* fotograf altı (yazısı)
**binxak** *nd* toprak altı, yer altı
**binxakbûn** *m* gömülme
**binxak bûn** *l/ngh* gömülmek
**binxakkirin** *m* gömme
**binxak kirin** *l/gh* gömmek
**binxaltî** *bnr* bilxaltî
**binxan** *bnr* binxane
**binxane** *m* alt yapı
**Binxetê** *nd* Suriye
**binxetkirin** *m* altını çizmek
**binxet kirin** *l/bw* altını çizmek
**binxistin** *m* alt etme, yenme
**bin xistin** *l/gh* alt etmek, yenmek
**binxistî** *rd* yenik, yenilmiş olan
**binxî kirin** *l/gh* hasıraltı etmek
**binyad** *bnr* binyat
**binyadîn** *rd* esasî, temel
**binyan** *n* **1**. temel, esas (bir yapının toprak

altında kalan ve yapıya dayanak olan duvar, taban vb. bölümlerinin tümü) **2.** temel (bu bölümleri yapmak için kazılan çukur)
**binyat** *m* **1.** yapı (bütünün bir araya getirilişinde uyulan dizge, strüktür) **2.** *sos* yapı (parçaları veya öğeleri arasında yasaya uygunluk, durağan bağlar ve karşılıklı ilişkiler bulunan dizge veya bütün) **3.** temel, esas (bir yapının toprak altında kalan ve yapıya dayanak olan duvar, taban vb. bölümlerinin tümü) **4.** temel (bu bölümleri yapmak için kazılan çukur) **5.** köken * **binyata Kurdan** Kürtlerin kökeni ~ **danîn** temel atmak ~ **girtin** temel tutmak
**binyatger** *nd/rd* yapısalcı, strüktüralist
**binyatgerî** *m* yapısalcılık, strüktüralizm
**binyatgerîtî** *m* yapısallık
**binyatî** *rd* **1.** yapısal, strüktürel **2.** esasî, esaslı
**binyatnasiyî** *rd* morfolojik
**binyatnasî** *bot/zo* **1.** yapı bilimi **2.** *m* yapı bilgisi, morfoloji
**binyatparêz** *nd/nt* radikal
**binye** *m* **1.** yapı (bütünün bir araya getirilişinde uyulan dizge, strüktür) **2.** *sos* yapı (parçaları veya öğeleri arasında yasaya uygunluk, durağan bağlar ve karşılıklı ilişkiler bulunan dizge veya bütün) **3.** yapılış * **bunyeya vê avahiyê ji erdhejê re zexm e** bu binanın yapılışı depreme dayanıklıdır **4.** bünye (vücut yapısı)
**binyewî** *nd/nt* yapısalcı
**binzik** *n* göbek altı, karın altı
**binziman** *n* dil altı
**biocax** *rd* ocaklı
**biode** *rd* odalı
**bioje** *rd* **1.** ojeli (oje sürülmüş olan) **2.** ojeli (içinde oje bulunan)
**bioksîjen** *rd* oksijenli (içinde oksijen bulunan)
**bi oksîjen kirin** *l/bw* oksijenlemek
**biolan** *rd* yankılı
**biolî** *rd* odalı
**bi oreor** *h* böğüre böğüre (sığırlar için)
**biorgan** *rd* organlı
**bi organ bûn** *l/bw* organlaşmak
**biorkestra** *rd* orkestralı
**biostayî** *rd* ustalıklı
**biotax** *rd* odalı
**bioxir** *rd* uğurlu
**bi oxir dîtin** *l/bw* uğursamak
**bioxur** *bnr* bioxir
**bipab** *rd* kepekli
**bipace** *rd* pencereli
**bipaje** *rd* kanıtlı
**bi pakî** *h* güzellikle
**bipal** *rd* rampalı
**bipalan (I)** *rd* semerli
**bipalan (II)** *rd* süzgeçli
**bipalanga** *rd* palangalı
**bipaldank** *rd* payandalı
**bipalder** *rd* mesnetli
**bipaldûm** *rd* kuşkunlu
**bipalet** *rd* paletli
**bipalpişt** *rd* **1.** kanıtlı, mesnetli **2.** arkalıklı
**bi palpişt** *h* **1.** delili olarak **2.** dayanakla **~iya (...)** dayanarak, dayanağı ile
**bi palpiştî** *h* isnaden
**bi palûtetî** *h* imece üsulu
**bipancik** *rd* paçalı * **derpiyê bipancik** geniş paçalı don
**bi paniyê** *h* topukla
**bi paniyê lê dan** *l/bw* topuklamak, topukla vurmak
**bi paniyê lê xistin** *l/bw* topuklamak, topukla vurmak
**bipanî** *rd* topuklu * **sola bipanî** topuklu ayakkabı
**bipap** *rd* tortulu
**bipapax** *rd* kalpaklı
**bipaplûk** *rd* basamaklı
**bipaq** *rd* bacaklı
**bi paqijî** *h* temiz olarak
biparafîn *rd* parafinli
**biparazît** *biy/rd* **1.** parazitli **2.** parazitli * **radyo biparazît e** radyo parazitli
**biparazîtbûn** *m* parazitlenme
**bi parazît bûn** *l/bw* parazitlenmek
**biparçe** *rd* parçalı
**bi pardanî** *h* taksitle
**biparek** *rz/rd* ekli
**biparinc** *rd* maaşlı
**biparseng** *rd* dengeli
**bi parsê ketin** *l/bw* dilenmek
**biparsêl** *rd* parselli
**bi parsimê ketin** *l/bw* nezleye yakalanmak
**biparsû** *rd* kaburgalı
**bi partîgirî** *h* partizanca
**bi partîzanî** *h* partizanca
**biparvebûn** *m* paylaşılmak üleşilme
**bi par ve bûn** *l/bw* paylaşılmak, üleşilmek
**biparvekirin** *m* paylaştırma, üleşme, üleştirme
**bi par ve kirin** *l/bw* paylaştırmak, üleşmek, üleştirmek
**biparxan** *rd* kaburgalı
**bipaso** *rd* pasolu
**bipasta** *rd* pastalı * **kincê bipasta** pastalı giysi
**bipastûk** *rd* yakalı
**bi paş de avêtin** *l/bw* ertelemek, talik etmek
**bi paş de hatin** *l/bw* geri dönmek
**bi paş de vekişîn** *l/bw* **1.** gerilemek, geriye çekilmek **2.** adımını geri almak (başladığı bir işten geri dönmek)
**bi paş de xistin** *l/bw* ertelemek, tecil etmek, tehir etmek
**bi paş de zivirîn** *l/bw* geri dönmek
**bipaşil** *rd* hamile
**bipaşketin** *m* gerileme
**bi paş ketin** *l/bw* gerilemek, geriye çekilmek
**bipaşkur** *rd* yakalı

**bipaşpanîk** *rd* mahmuzlu (tavukgillerin ve bazı kuşların ayakları ardında bulunan boynuz yapısındaki sivri uzantı)
**bi paşpenî** *h* giyaben * **bi paşpenî hukm dan** giyaben hüküm verildi
**bi paş piştê de çûn** *l/bw* 1. gülmekten arka üstü düşmek, çok gülmek 2. yenilen şey vücuda dokunmak
**bi paş piştê de man** *l/bw* himayede kalmak
**bi paş ve avêtin** *l/bw* ertelemek
**bi paş ve çûn** *l/bw* gerilemek, geriye çekilmek
**bi paş ve dan** *l/bw* ertelemek, tehir etmek
**bi paş ve hatin** *l/bw* geri gelmek
**bi paş ve kişandin** *l/bw* kızağa çekmek (bir görevliyi etkin görevden alıp, pasif bir göreve vermek)
**bi paş ve vegerîn** *l/bw* geri dönmek, ters yüz (veya ters yüzü) geri dönmek
**bi paş ve xistin** *l/bw* ertelemek, tecil etmek
**bi paş ve zivirîn** *l/bw* sağdan geri dönmek (veya sağdan geri etmek)
**bi paş xistin** *l/bw* ertelemek, talik etmek, tehir etmek
**bipate** *rd* yamalı
**bipatet** *rd* patatesli
**bi paxavpênekirî** *h* fütursuzca
**bipayan** *rd* bitimli
**bipayende** *rd* payandalı
**bipboz** *rd* bomboz
**bipegr** *rd* tortulu
**bipehnî** *rd* ökçeli, topuklu
**bipejnkerî** *rd* duyarlıklı
**bipel** *rd* yapraklı
**bi pelaxtinê** *h* ezim ezim
**bipelçim** *rd* yapraklı
**bipelik** *rd* pullu * **masiyê bipelik** pullu balık
**bipelîse** *rd* kısmetli
**bipelîşk** *rd* çapaklı
**bipelqeçîçk** *rd* kursaklı
**bi pembe ve** *rd* pembemsi
**bipembû** *rd* pamuklu
**bi pembû** *h* pamukla, pamuk ile ~ **(yekî) şerjê kirin** kadife eldivenle vurmak, çaktırmadan başkalarına zarar vermek
**bipenah** *rd* hamili, hamisi olan
**bipence** *rd* 1. pençeli 2. pençeli (ayakkabı için)
**bipencere** *rd* pencereli
**bipencik** *rd* pençeli
**bi pendan** *h* nasihat yollu ~ **(yek) anîn rê** uyarmak (öğütle)
**bipenes** *rd* pullu * **lê kincekî bipenes hebû** üstünde pullu bir elbise vardı
**bipenêr** *rd* peynirli
**biper** *rd* kanatlı ~ **û bask bûn** kuş kanadıyla gitmek
**bi peran ketin** *l/bw* uçmaya başlanmak
**biperçîçeq** *rd* kursaklı
**biperçîn** *rd* perçinli
**biperde** *rd* 1. perdeli 2. *mzk* perdeli * **saz amûreke biperde ye** saz perdeli bir çalgıdır
**bi pere** *h* parayla
**bipere** *rd* 1. paralı 2. paralı (bedeva olmayan) * **dibistana bipere** paralı okul
**biperebûn** *m* paralanma
**bipere bûn** *l/bw* paralanmak (parasız iken para elde etmek)
**biperebûyîn** *m* paralanış
**biperespan** *rd* yamalı
**bi peretî** *h* nakden
**bipergal** *rd* düzenli, tertipli * **çûn û hata wê bipergal in** gidiş gelişleri düzenli
**bipergalbûn** *m* 1. düzenli olma 2. düzenlilik
**bi pergal bûn** *l/bw* düzenli olmak
**biperik** *rd* pullu * **destê wî tev biperik bû** elleri hep pulluydu
**bipertav** *rd* takatlı
**biperû** *rd* ödüllü
**biperwane** *rd* pervaneli
**biperwaz** *rd* pervazlı
**bipevçûn** *rd* kavgalı * **civîneke bipevçûn** kavgalı bir toplantı
**bi peyatî** *h* yaya olarak, yayan ~ **çûn** yayan gitmek, yaya olarak gitmek ~ hatin yayan gelmek, yaya olarak gelmek
**bipeyker** *rd* heykelli
**bipeyketin** *m* 1. kovalama, kovalayış 2. kovuşturma 3. arama (önem verip isteme) 4. -e düşme (aşırı ilgi veya sevgi gösterme)
**bi pey ketin** *l/bw* 1. kovalamak, ardına düşmek, ardına vermek (kaçanın ardına düşmek, yakalamaya çalışmak) * **çendê berê di tavehîvê de bi pey çend siwaran ketibû** geçenlerde ay ışığında üç atlıyı kovalamış 2. kovuşturmak 3. aramak (önem verip istemek) * **ez bi pey tiştên wiha nakevim** ben böyle şeyleri aramam 4. -e düşmek (aşırı ilgi veya sevgi göstermek) 5. (kocaya) kaçmak, varmak * **kurik çi bike, keçik bi pey ketiye** çocuk ne yapsın, kız ona kaçmış
**bi pey mêr ketin** *l/bw* kocaya kaçmak
**bi pey şopa (...) ketin** *l/bw* (birinin veya bir şeyin) izinin peşine düşmek
**bi pey şopan ketin** *l/bw* iz peşine düşmek
**bipeyt û guvah** *rd* ispatlı şahitli
**bipeyv** *rd* kelimeli, sözcüklü
**bi peyvê** *h* kelimeyle, konuşmayla ~ **sifir (an jî paxir) nabe zêr** lâfla peynir gemisi yürümez
**bi pey xistin** *l/bw* 1. ardına düşürmek, peşine takmak 2. kızı birine kaçmasını sağlamak
**bipezîzank** *rd* kursaklı
**bipê** *rd* 1. ayaklı 2. bacaklı 3. uğurlu, kademli ~ **û par be!** kademli olsun!, uğurlu olsun! ~ **û par e** ayağı uğurlu
**bipêçek** *rd* kundaklı
**bipêçîk** *rd* parmaklı
**bipêçk** *rd* sargılı

**bipêçke** *rd* tekerli
**bipêdark** *rd* nalınlı, takunyalı
**bipêl** *rd* **1.** dalgalı **2.** *fiz* dalgalı (belli dalga boylarını alabilen)
**bipêlekan** *rd* basamaklı
**bipêlik** *rd* **1.** basamaklı **2.** kademeli, dereceli
**bipêling** *rd* basamaklı
**bipêlpêlik** *rd* basamaklı
**bipêlpêlok** *rd* basamaklı
**bi pêneewletî** *h* güvensizce
**bipêpeling** *rd* basamaklı
**bipêpelok** *rd* basamaklı
**bipêpelûk** *rd* basamaklı
**bipêpilanik** *rd* basamaklı
**bipêping** *rd* basamaklı
**bipêrbest** *rz/rd* edatlı
**bi pêrgî hatin** *l/bw* karşılamaya gelmek
**bi pêrgî ve çûn** *l/bw* karşılamaya gitmek
**bi pêrî hatin** *l/bw* karşılamaya gelmek
**bi pêrî ve çûn** *l/bw* karşılamaya gitmek
**bipêsîr** *rd* memeli
**bi pêsîra (...) girtin** *l/bw* yakasına yapışmak
**bipêsîra hev girtin** *l/bw* (birbirine) yapışmak, takışmak
**bi pêstûrî** *h* zorla
**bipêşanîk** *rd* perçemli
**bi pêşberî hev ketin** *l/bw* yüzleşmek, yüzyüze gelmek * **ez dikarim her tim bi pêşberî wî bikevim** ben onunla her zaman yüzleşebilirim
**bi pêşberî hev xistin** *l/bw* yüzleştirmek
**bi pêşberî (...) xistin** *l/bw* -e yüzleştirmek
**bi pêş çav xistin** *l/bw* gözler önüne sermek
**bi pêş çavê (...) ketin** *l/bw* (birinin) gözüne ilişmek
**bi pêş de** *b* **1.** ileri **2.** *h* ileri * **em maseyê bi pêş de bikişînin** masayı ileri çekelim ~ **dan** ileri almak
**bi pêş de birin** *l/bw* ilerletmek
**bi pêş de çûn** *l/bw* gelişmek, ilerlemek, inkişaf etmek
**bi pêş de hatin** *l/bw* **1.** öne doğru gelmek **2.** karşılamaya gelmek **3.** ilerlemek
**bi pêş de xistin** *l/bw* ilerletmek, geliştirmek
**bi pêşiya (..) xistin** *l/bw* (birini) geçmek, (birini) sollamak
**bi pêşîn** *h* peşin olarak
**bipêşke** *rd* tekerlekli
**bipêşketin** *m* **1.** gelişme, ilerleme, inkişaf etme **2.** kalkınış, kalkınma
**bi pêş ketin** *l/bw* **1.** gelişmek, ilerlemek, inkişaf etmek * **welatê ku bi saya aboriyê bi pêş ketine** ekonomi sonucu gelişmiş ülkeler **2.** kalkınmak
**bipêşketî** *rd* **1.** ileri, ilerlemiş, gelişmiş **2.** kalkınmış
**bipêşmalk** *rd* önlüklü, peştemallı
**bipêşmêr** *rd* hamili, hamisi olan
**bi pêşmêr bûn** *l/bw* hamisi olmak
**bi pêşpenî** *h* vicahen
**bipêşvebirin** *m* geliştirme, ilerletme
**bi pêş ve birin** *l/bw* geliştirmek, ilerletmek * **welatê xwe gelek bi pêş ve birin** ülkelerini hayli geliştirdiler
**bipêşveçûn** *m* **1.** ilerleme, ilerleyiş, yol alam **2.** ilerleme, gelişme, terakki
**bi pêş ve çûn** *l/bw* **1.** ilerlemek (bulunduğu yerden daha ileriye gitmek, yol almak) **2.** ilerlemek (daha güçlü, daha etkili duruma gelmek) * **dostanî bi pêş ve çû** dostluk ilerledi **3.** ilerlemek, gelişmek, inkişaf etmek (daha iyi, daha yüksek bir düzeye, aşamaya erişmek) * **welatê ku bi saya aboriyê bi pêş ve çûne** ekonomi sonucu gelişmiş ülkeler
**bi pêş ve hatin birin** *l/tb* geliştirilmek
**bi pêş ve hatin xistin** *l/tb* geliştirilmek
**bipêşveketin** *m* **1.** ilerleme (daha güçlü, daha etkili duruma gelme) **2.** ilerleme (daha iyi, daha yüksek bir düzeye, aşamaya erişme, gelişme)
**bi pêş ve ketin** *l/bw* **1.** ilerlemek (daha güçlü, daha etkili duruma gelmek) **2.** ilerlemek (daha iyi, daha yüksek bir düzeye, aşamaya erişmek, gelişmek)
**bipêşveketî** *rd* **1.** ilerlemiş (daha güçlü, daha etkili duruma gelmiş) **2.** ilerlemiş (daha iyi, daha yüksek bir düzeye, aşamaya erişmiş, gelişmiş)
**bipêşxistin** *m* **1.** ilerletme, geliştirme **2.** kalkındırma **3.** yürütme (gerektiği gibi yapma, uygulama)
**bi pêş xistin** *l/bw* **1.** ilerletmek, geliştirmek **2.** kalkındırmak **3.** yürütmek (gerektiği gibi yapmak, uygulamak)
**bipêşxistî** *rd* **1.** ilerletilmiş, geliştirilmiş **2.** kalkındırılmış
**bipêt** *rd* alevli
**bipêûpar** *rd* kademli, uğurlu
**bipêweran** *rd* basamaklı
**bipêx** *rd* bacaklı
**bi pihêtî** *h* sağlamca
**bipile** *rd* dereceli
**bipilîç** *rd* çapaklı
**bipilpilînik** *rd* ibikli, emzikli (çaydanlık, ibrik gibi kaplar için)
**bi pinîtî** *h* sinsice
**bipir** *rd* köprülü
**bi piranî** *h* çoğunlukla, ağırlıklı, ağırlıklı olarak * **em dê bi piranî li ser mafên karkeran rawestin** ağırlıklı olarak işçi haklarına değineceğiz
**bipirç** *rd* **1.** kıllı **2.** tüylü
**bipirçbûn** *m* **1.** kıllanma **2.** tüylenme
**bi pirç bûn** *l/bw* **1.** kıllanmak **2.** tüylenmek
**bipirçkirin** *m* **1.** kıllandırma **2.** tüylendirme
**bi pirç kirin** *l/bw* **1.** kıllandırmak **2.** tüylendirmek

**bi piroleyî** *h* 1. abartılı bir şekilde 2. taşkınca
**bipirsê** *h* sormayla, sorarak ~ **mirov diçe Xursê (Qersê, Qudsê an jî Mala Xwedê)** sora sora Bağdat bulunur ~ **mirov digihê Xursê** sora sora Bağdat bulunur
**bipirsgirêk** *rd* sorunlu
**bipirtê** *h* zıplayarak ~ **çûn** zıplayarak gitmek
**bipirtik** *rd* 1. kıtıklı 2. taraz taraz (üzeri tel tel iplik olan kumaş) 3. tüylü
**bipirtikbûn** *m* tüylenme
**bi pirtik bûn** *l/bw* tüylenmek
**bipirtikkirin** *m* tüylendirme
**bi pirtik kirin** *l/bw* tüylendirmek
**bipirzik** *rd* sivilceli
**bi pisepis** *h* fısıl fısıl
**bi pistepist** *h* fısıl fısıl
**bipisûla** *rd* pusulalı
**bipiş** *rd* nemli (toprak için)
**bi pişkdarî** *h* ortaklaşa, müştereken
**bipişkepişk** *rd* hapşırıklı
**bipişkîn** *rd* hapşırıklı
**bi pişpişîn** *h* kabara kabara
**bipişt (I)** *rd* arkalı (koruyanı, koruyucusu olan)
**bipişt (II)** *rd* kuşaklı
**bi pişta (...) bûn** *l/bw* (birine) güvenmek
**bi pişta (...) kirin** *l/bw* (birine) dayanarak, güvenerek yapmak
**bi piştdanî** *h* destekle, arka çıkararak ~ **iya (...)** -e dayanarak
**bipiştemal** *rd* peştemallı
**bi piştê** *h* sallasırt, sırta taşınarak
**bipiştên** *rd* kuşaklı
**bi piştî ketin berê** *l/bw* sırtlamak, sırtla getirmek
**bipiştketin** *m* 1. belirlenen süre aşılma 2. atlama
**bi pişt ketin** *l/bw* 1. belirlenen süre aşılmak 2. atlamak * **bila dîlan bi pişt bikev em dê bên** düğünü atlatalım geliriz
**bipiştmêrî** *rd* arkalı (koruyanı, koruyucusu olan)
**bipiştpê** *rd* ağımlı
**bipiştvanek** *rd* arkalı, hamili (koruyanı, koruyucusu olan)
**bipiştvanekbûn** *m* hamisi olma
**bi piştvanek bûn** *l/bw* hamisi olmak
**bipiştxistin** *m* 1. belirlenen süreyi aşınak 2. atlatma (kötü bir durum veya bir işi geçiştirme)
**bipiştxistin** *l/bw* 1. belirlenen süreyi aşmak 2. atlatmak (kötü bir durum veya bir işi geçiştirmek) * **ez dîlanê bi pişt bixim ez dê bêm** düğünü atlatıp geleceğim
**bipixêrî** *rd* ocaklı
**bipixûr** *rd* tütsülü
**bi piyan** *h* 1. yaya, yayan olarak 2. ayakla, ayaklı (ayakla çalışan makine vb.) ~ **çûn** yayan gitmek ~ hatin yayan gelmek
**bi piyan çûn** *l/bw* 1. yürümek 2. ayağa kalkmak, ayaklanmak (çocuk için) 3. yaya gitmek, yayan gitmek
**bi piyan hatin** *l/bw* yaya gelmek
**bi piyan ketin** *l/bw* ayaklanmak, yürümek, yürümeye başlamak (çocuk; ayakları üzerinde gezecek duruma gelmek) * **zarok zû bi piyan ket** çocuk erken yürümeye başladı
**bi piyan pîvan** *l/bw* adımlamak, adımla ölçmek, ayaklamak
**bi piyan xistin** *l/bw* yürütmek (çocukların yürümelerini sağlamak)
**bi piyê xwe hatin** *l/bw* ayağı ile (veya kendi ayağı ile) gelmek
**bi piyê xwe re kaş kirin** *l/bw* (birileri) kendisiyle baş edememek
**bi piyên tazî** *h* yalın ayak, yalın ayakla, çıplak ayakla
**bi piyênxwas** *h* yalın ayak, yalın ayakla, çıplak ayakla
**bipizdan** *rd* eteneli (memeli küçük baş hayvan için)
**bipizik** *rd* sivilceli
**bipizîng** *rd* emzikli
**bipizrik** *rd* sivilceli
**bipî** *rd* kollu
**bipîde** *rd* pideli
**bipîjaq** *rd* bacaklı
**bipîjik** *rd* kıymıklı
**bipîl** *rd* pilli
**bipîlaqe** *rd* plâkalı
**bipîle** *rd* kırmalı (üstünde kırmaları olan giysi)
**bipînc** *rd* kamalı
**bipîncik** *rd* kamalı
**bipîne** *rd* yamalı
**bipîpik** *rd* 1. düdüklü 2. ibikli, emzikli (çaydanlık, ibrik gibi kaplar için)
**bipîr** *rd* görgülü ~ **û şinûlk** yol iz bilme ~ **û şinûlk bûn** yol iz bilmek (görgülü davranmak)
**bipîrik** *rd* ebeli
**bipîrûpergal** *rd* 1. düzenli, tertipli 2. görgülü
**bipîrûpergal** *rd* görgülü
**bi pîrûpergal** *h* görgülüce
**bipîrûpergalbûn** *m* görgülenme
**bi pîr û pergal bûn** *l/bw* görgülenmek
**bi pîsitiyê dan hev** *l/bw* kirli çıkkın olmak
**bipîston** *rd* pistonlu
**bi pîşadî** *h* tesadüfen
**bipîvan** *rd* ölçülü, tartılı
**bipîvaz** *rd* soğanlı
**biplaka** *rd* plâkalı
**biplan** *rd* plânlı * **tevgera biplan** planlı hareket
**biplanbûn** *m* 1. plânlı olma 2. plânlılık
**bi plan bûn** *l/bw* plânlı olmak
**bi planî** *h* planlıca
**bipoçax** *rd* perçemli
**bipolik** *rd* pullu (paralı) ~**ekî nekirin** beş ku-

ruş etmemek
**bipoperîşk** *rd* yeleli
**bipopîn** *rd* hotozlu
**bipor** *rd* saçlı
**biporik** *bot/rd* kılçıklı
**biposat** *rd* pusatlı
**biposatkirin** *m* pusatlandırma
**bi posat kirin** *l/bw* pusatlandırmak
**bipost** *rd* postlu
**bipostayê** *h* postayla, posta yolu ile ~ **şandin** postalamak
**bi poşan çûn hev** *l/bw* toslaşmak, toslarla birbirine vurmak
**bi poşan li hev dan** *l/bw* toslaşmak
**bi poşan li hev xistin** *l/bw* tokuşmak, toslaşmak
**biposî** *rd* peçeli, poşulu
**bi poşmanî** *h* pişmanlık duyarak
**bipoz** *rd* burunlu ~**ê yekî ve man** (birini) rahat bırakmamak
**bipozik** *rd* burunlu (çıkıntısı olan)
**biprîm** *rd* primli
**biproblem** *rd* problemli, sorunlu
**biprogram** *rd* programlı
**biproteîn** *rd* proteinli
**bipuan** *rd* puanlı
**bipudra** *rd* pudralı
**bipuşul** *bnr* bipûşil
**bipuxte** *rd* özlü
**bipûjan** *rd* naneli
**bipûl** *rd* pullu * **nameya bipûl** pullu mektup
**bipûncik** *rd* perçemli
**bipûng** *rd* yarpuzlu
**bipûrt** *rd* **1.** tüylü **2.** havlı * **qumaşê bipûrtik** havlı kumaş
**bipûrtbûn** *m* tüylenme
**bi pûrt bûn** *l/bw* tüylenmek
**bipûrtkirin** *m* tüylendirme
**bi pûrt kirin** *l/bw* tüylendirmek
**bipûşak** *rd* kıyafetli
**bipûşenî** *rd* kıyafetli
**bipûşil** *rd* edepli
**bipûşilbûn** *m* edeplenme
**bi pûşil bûn** *l/bw* edeplenmek
**bipûşî (I)** *rd* duvaklı, peçeli
**bipûşî (II)** *rd* ibikli
**biqab** *rd* **1.** kapaklı **2.** kaplı (kap kacaklı) **3.** kemerli
**biqabiliyet** *rd* kabiliyetli, yetenekli
**biqabkabk** *rd* takunyalı
**biqaçil** *rd* **1.** kabuklu **2.** kapçıklı * **tovê biqaçil** kapçıklı tohum
**biqafa** *rd* **1.** kafalı **2.** kafalı (zeki) * **merivekî biqafa ye** kafalı adam
**biqafiye** *wj/rd* kafiyeli
**bi qajeqaj** *h* çığlık çığlığa
**bi qajewaj** *h* bağırış çağırışla, çığlık çığlığa
**bi qajînî** *h* çığlık çığlığa
**bi qajqajokî** *h* çığırtkanca
**biqalçik** *rd* kabuklu
**bi qaleşî** *h* kalleşçe
**biqalib** *rd* kalıplı
**biqalik (I)** *bj/rd* döküntülü
**biqalik (II)** *rd* **1.** kabuklu, kavkılı **2.** kapçıklı * **tovê biqalik** kapçıklı tohum .
**biqalpax** *rd* kapaklı
**biqam** *rd* aşırı
**biqamçî** *rd* kamçılı
**biqame** *rd* kamalı (üzerinde kama bıçağı olan)
**biqamir** *rd* kamışlı
**biqamîş** *rd* kamışlı
**biqanat** *rd* kanatlı (kapı, pencere için) * **paceya biqanat** qanatlı pencere
**bi qandî** *d* **1.** -e kadar (ölçüsünde, derecesinde) * **bi qandî masîgiriyê pere di vî îşî de tune** balıkçılık kadar para bu işte yok **2** kadar (büyüklüğünde) * **telê wê bi qandî te bû** boyu senin kadar idi * **cihekî bi qandî kefa dest** avuç içi kadar yer **3.** kadar (süre belirtir) * **bi qandî sê mehan, li wir mam** üç ay kadar orada kaldım **4.** kadar (miktar, derece) **5.** kadar (sıfatlarla kullanıldığında kesinlikle belli olmayan bir niceliği gösterir) * **li ber kaniyê bi qandî sed kesî li hev piçikîbûn** çeşmenin önünde yüz kadar insan birikmişti ~ **çivîkê xwarin** kuş kadar yemek ~ **dinyayê** ölesiye * **ez bi qandî dinyayê ji te hez dikim** seni ölesiye seviyorum ~ **ku** *h* yeterince ~ **misqalê** zere kadar * **bi qandî misqalê jî havila wê nîn e** zerre kadar yararı yok ~ **pêçiyekê** parmak kadar
**biqane** *rd* kanatlı (kapı, pencere için)
**bi qanûn** *h* kanun yoluyla
**biqanûn** *rd* kanunlu
**bi qanûnî** *h* kanunen
**bi qapan** *h* afra tafra
**biqapan** *rd* afra tafralı, cakalı, çalımlı, gösterişli, afili
**biqapax** *rd* kapaklı
**biqarçik** *rd* mantarlı
**bi qarqarokî** *h* çığırtkanca
**bi qasî** *d* **1.** -e kadar (ölçüsünde, derecesinde) * **bi qandî masîgiriyê pere di vî îşî de tune** balıkçılık kadar para bu işte yok **2** kadar (büyüklüğünde) * **telê wê bi qasî te bû** boyu senin kadar idi **3.** kadar (süre belirtir) * **bi qasî sê mehan, li wir mam** üç ay kadar orada kaldım **4.** kadar (miktar, derece) **5.** kadar (sıfatlarla kullanıldığında kesinlikle belli olmayan bir niceliği gösterir) ~ **dinyayê** *h* ölesiye * **ez bi qasî dinyayê ji te hez dikim** seni ölesiye seviyorum ~ **ku** *h* yeterince ~ **misqalê** zere kadar * **bi qasî misqalê jî havila wê nîn e** zerre kadar yararı yok ~ **nimêjê** namazlık * **bi qasî nimêjekê wê seltanatê te hebe** bir namazlık saltanatın olacak ~ **pêçiyekê** parmak kadar
**biqaş** *rd* taşlı * **gustîlka biqaş** taşlı yüzük

**biqaşar** *rd* kaşarlı * **tostê biqaşar** kaşarlı tost
**biqaşe** *rd* kaşeli
**biqaşik** *rd* kabuklu
**biqaşûl** *rd* kabuklu
**biqat** *rd* tabakalı
**biqatix** *rd* katıklı
**bi qayde** *h* kurallıca, usulca **~yî (yekî) kirin 1)** -e özenmek (bir şeyi taklit etmeye çalışmak) * **ma qey ez nizanim, tu jî bi qaydeyî wê dikî** sende ona özeniyorsun, sanki bilmiyormuyum **2)** yansılamak
**biqayde** *rd* kurallı, kaideli
**biqaydekirin** *m* yansılama
**bi qayde kirin** *l/bw* yansılamak
**bi qayde xeber dan** *l/bw* imalı konuşmak
**biqazox** *rd* kazıklı
**biqbiqandin** *m* kaynatma
**biqbiqandin** *l/gh* kaynatmak
**biqbiqîn** *m* kaynama
**biqbiqîn** *l/ngh* kaynamak
**biqbiqok** *m* su kabarcığı
biqebale *rd* sözleşmeli, kontratlı
**bi qebaletî** *h* götürü pazarlık
**biqebare** *rd* hacimli
**biqebehet** *rd* kabahatlı
**biqedeme** *rd* aşamalı, kademeli, dereceli * **hilbijartina biqedemeyekê** tek dereceli seçim
**biqedexe** *rd* yasaklı
**biqedir** *rd* hatırlı ~ **û qîmet** hatırı sayılır, hatırlı ~ **ê Xwedê kirin** Allah aşkına
**biqefes** *rd* kafesli
**biqefl** *rd* kilitli (kilidi olan) * **ez dixwazim bavûleke biqefl bikirim** kilitli bir bavul almak istiyorum
**biqefle** *nd* iki elle kaldırılabilen demet
**bi qehpikî** *h* **1.** kahpece **2.** *me* kahpece (kaleşçe)
**biqela** *rd* kalaylı
**biqelafet** *rd* cüsseli
**bi qelebalix** *h* kalabalıkça
**biqelebalix** *rd* **1.** gürültülü **2.** kalabalık ağızlı
**biqelî** *rd* kavurmalı * **xwarina biqelî** kavurmalı yemek
**biqelmeqelm** *rd* gürültülü (karışık olaylarla dolu)
**biqelûn** *rd* çubuklu (ağzıklı)
**biqemç** *rd* kuyruklu
**biqemçik** *rd* kuyruklu
**biqemûşk** *rd* **1.** çapaklı **2.** kabuklu
**biqendîl** *rd* kandilli
**biqepûşk** *rd* kozalı
**biqerar** *rd* kararlı
**bi qerardarî** *h* kakarlıca
**biqerarî** *m* kararlılık
**bi qerd** *h* borçla, veresiye ~ **dan** veresiye vermek
**biqerebalix** *bnr* biqelebalix
**biqerewat** *rd* kravatlı
**bi qerînan** *h* iğneleyici
**biqerîne** *rd* imalı, iğneli, dokunaklı, kinayeli
**bi qerîne** *h* kinayeli olarak, dokunaklı sözle, iğneli sözle ~ **axaftin (peyîvîn** an jî **xeber dan)** üstü kapalı (veya örtülü) konuşmak **~yan çûn (yekî)** laf dokundurmak
**bi qerîne xeber dan** *l/bw* imalı konuşmak
**biqerme** *rd* kırmalı (üstünde kırmaları olan giysi)
**biqermûçek** *rd* plili
**biqerpîn** *rd* patırtılı
**biqerqer** *rd* kefenli
**biqerqeşûn** *rd* kargaşalı
**biqerqûş** *rd* kabuklu
**biqertaf** *rz/rd* ekii
**biqerz** *h/rd* ödünç, borçla, borç olarak
**biqerzdan** *m* borç ile verme, ödünç verme
**bi qerz dan** *l/bw* borç ile vermek, ödünç vermek
**biqerzgirtin** *m* borcla almak
**bi qerz girtin** *l/bw* borca almak
**biqerzwergirtin** *l/bw* ödünç alma
**bi qerz wergirtin** *l/bw* ödünç almak
**biqerzwergirtî** *rd* ödünçleme
**bi qesdanî** *h* bile bile, kasten, kastî, taammüden
**bi qesem** *h* kasem ile
**bi qest** *h* bilerek, şakacıktan
**bi qestî** *h* **1.** bile bile, kasten, taammüden **2.** yalandan
**biqestî** *rd* kasıtlı
**biqestûkan** *h* **1.** şakacıktan, şaka olarak (çocuk dilinde) * **min bi qestûkan got, megirî** şakacıktan söyledim, ağlama **2.** şakacıktan (şaka yapar görünerek) **3.** şakadan, şaka yoluyla (veya yoluyla) **3.** yalancıktan, yalandan
**biqeşa** *rd* donlu
**bi qeşayê ketin** *l/bw* don yemek
**biqeşem** *rd* buzlu
**biqeşite!** *b* defol!, gazla!, bas (veya bas git)
**biqeşqelîk** *rd* kabuklu
**bi qetabkirî** *h* eklenerek
**bi qethî** *h* kesinkes, kesin olarak
**bi qetî** *h* kat'î olarak
**biqetît** *rd* dilinli
**biqetran** *rd* katranlı
**bi qevazdanê** *h* atlaya zıplaya
**bi qevd** *h* tutam olarak **~a destê (yekî) girtin** nabzını tutmak
**biqewan** *rd* kapçıklı
**biqeware** *rd* hacimli
**biqewat** *rd* gelenekli
**biqewet** *rd* **1.** kuvvetli, güçlü **2.** kuvvetli (saygın, nüfuzlu) **3.** kuvvetli (nitelikleri ile etki yaratan, etkili) * **ca ez xurîniyeke biqewet bikim** kuvetli bir kahvaltı edeyim **4.** güçlü, tuttuğunu koparan **5.** *h* kuvvetlice * **kurikekî biqewet e** kuvvetlice bir çocuk

**biqewetbûn** *m* kuvvetlenme, güçlenme
**bi qewet bûn** *l/bw* kuvvetlenmek, güçlenmek
**biqewetbûyîn** *m* kuvvetleniş, güçleniş
**bi qewetî cebrî** *h* zorla, kafasına vura vura, çatır çatır (zor kullanarak, baskı yaparak)
**biqewetkirin** *m* kuvvetlendirme, güçlendirme
**bi qewet kirin** *l/bw* kuvvetlendirmek, güçlendirmek
**biqewl** *rd* vadeli
**biqewman** *rd* olaylı
**biqews** *rd* kavisli, eğmeçli
**biqewxe** *rd* kavgalı
**biqeyd (I)** *rd* bukağılı
**biqeyd (II)** *rd* kayıtlı ~ **û şert** kayıtlı (şarta bağlı)
**biqeymax** *rd* **1.** kaymaklı (üzerinde kaymak olan) **2.** kaymaklı (içinde kaymak olan)
**biqeynterme** *rd* oval işlemeli
**biqeys** *rd* ölçülü ~ **û qerar** kararlı (düzenli, dengeli, istikrarlı)
**biqeytan** *rd* **1.** kaytanlı **2.** şeritli (dar, uzun parça ve özellikle dokuma veya kumaş parçası için)
**bi qeytan ve kirin** *l/bw* şeritlemek
**biqezenc** *rd* kazançlı, kârlı
**biqiçqiçîn** *rd* çatırtılı
**biqidem** *rd* kıdemli
**bi qidemî** *h* kıdemce
**biqidemî** *m* kıdemlilik
**biqidoş** *rd* uğurlu
**biqijeqijz** *rd* cızırtılı (kızgın yağda bir şey pişirilirken)
**biqilf** *rd* kılıflı
**biqilê** *rd* kalaylı
**biqiloç** *rd* boynuzlu
**biqiloçkî** *nd* şelek, tek boynuzlu
**biqilom** *rd* tümsekli
**biqilpûşik** *rd* kabuklu
**biqilqal** *rd* endişeli, tedirgin
**biqimatk** *rd* kundaklı
**biqimatok** *rd* kundaklı
**bi qirçeqirç** *h* çatırdata çatırdata ~ **rakirin** çatır çatır sökmek, çatırdata çatırdata sökmek
**biqirçîn** *rd* çatırtılı
**biqirçînî** *rd* gıcırtılı (diş için)
**biqirên** *rd* kavgalı
**biqirik** *rd* boğazlı
**biqirika (..) girtin** *l/bw* yakasına yapışmak
**biqirika hev girtin** *l/bw* **1.** gırtlaklaşmak **2.** çekişmek, kapışmak, boğuşmak (kavgaya tutuşmak)
**biqirnik** *rd* çöplü
**biqirqap** *rd* takunyalı
**biqirşûqal** *rd* çöplü
**bi qisasî** *h* kısasa kısas
**biqisebûn** *rd* konuşkan
**biqisedan** *rd* konuşkan
**biqisedanbûn** *m* konuşkanlık
**biqismet** *rd* kısmetli
**biqisûr** *rd* kusurlu
**biqisûrî** *m* kusurluluk
**bi qitûtî** *h* kıtı kıtına
**biqitûtî** *rd* kısıntılı
**biqiyafet** *rd* kıyafetli
**bi qiyasê** *h* kıyasen
**biqîç** *rd* dişli ~ **û pîlan ketin (tiştekî)** kapana kısılmak
**bi qîjeqîj** *h* çığlık çığlığa
**bi qîjewîj** *h* bağırış çağrışla
**bi qîjînî** *h* çığlık çığlığa
**bi qîjqîjokî** *h* çığırtkanca
**biqîl** *rd* dişli ~ **û pîlan ketin (tiştekî)** kapana kısılmak
**bi qîma dilê xwe** *l/bw* gönlünce, gönlünün istediği gibi olmak
**bi qîma xwebûn** *l/bw* gönlünce, gönlünün istediği gibi olmak
**biqîmet** *rd* kiymetli, değerli
**biqîmetbûn** *m* kıymete binme, kiymetlenme
**bi qîmet bûn** *l/bw* kıymete binmek, kiymetlenmek
**biqîmetî** *m* kıymetlik
**bi qîreqîr** *h* avaz avaz, çığlık çığlığa
**bi qîrewîr** *h* bağırış çağırışla
**biqîrewîr** *rd* bağırışlı çağırışlı, gürültülü, patırtılı
**bi qîrînî** *h* çığlık çığlığa
**biqîş** *rd* yırtmaçlı
**biqîtik** *rd* budaklı
**biqoç** *rd* boynuzlu
**biqola** *rd* kolalı
**biqompîr** *rd* patatesli
**biqopçe** *rd* düğmeli (düğmesi olan)
**biqopik** *rd* hörgüçlü
**biqoqol** *rd* perçemli
**biqor** *rd* bacaklı
**biqorik** *rd* **1.** kalçalı **2.** kalçalı (kalçası iri ve geniş olan)
**biqorzî** *rd* köşeli
**biqot** *rd* tepeli
**biqoze** *rd* kozalı
**bi qubale** *h* götürü pazarlık ~ **girtin** götürü hesabı tutmak
**biqubale** *rd* mukaveleli
**biqube** *rd* kubbeli
**bi qubedetî** *h* kabadayıca
**bi qubedeyî** *h* kabadayıca
**biqudoş** *rd* kademli, uğurlu
**biqudret** *rd* kudretli
**biqufl** *rd* kilitli (kilidi olan)
**biqul** *rd* delikli ~ **û bexşikan ketin** köşe bucak dolaşmak
**biqulhe** *rd* payandalı
**biqulik** *rd* delikli
**biqulp** *rd* kulplu
**biqulpok** *rd* ilikli
**biqumçe** *bnr* biqupçe

* çi ka bide min hele bana ver ~ **karê te pê ketiye** üstüne vazife olmamak (veya değil) ~ **karê (yekî) heye** işi ne? ~ **kiro bi xwe kiro, xera kiro bi xwe re kiro** ne ettiyse kendine etti (hem iyilik hem kötülük anlamında) ~ **li ber destê (yekî) hebe** elinde avucunda nesi varsa ~ **li ser diçe bila here** her ne pahasına olursa olsun ~ **meriv î** (an jî **mirov î**) ne âlemsin * **tu çi meriv î kuro!** sen ne âlem çocuksun! ~ **min jê ye** bana dokunmayan (veya beni sokmayan) yılan bin yil yaşasın ~ **mixab e** maalesef ~ **neanîn!** (an jî **nehat**) gelsin (veya gelsin... gitsin), ne gelmedi ki! ~ **pê bûn** -e ne olmak ~ **pê dibe bila pê bibe** ne hali varsa görsün ~ **pê qedîn** gönlünden ne kopmak, ne verebilmek * **hema çi bi te qediya wî bide** gönlünden ne koptuysa onu ver ~ **pê ye!** neci oluyur! * **te çi pê ye, tu li karê ber xwe binêre!** sen neci oluyorsun, sen kendi işine bak! ~ **pîr e esil şîr e** asıl olan annedir, eğitici olan annedir ~ **qas 1)** ne kadar (nicelik anlamıyla soru bildirir) * **tu dê çi qas bimînî?** ne kadar kalacaksın? * **ev cil çi qas e?** bu elbise ne kadar? **2)** ne kadar (çok, oldukça) * **av çi qas germ e!** su ne kadar sıcak! **3)** ne kadar (ne ölçüde) * **hûn çi qas bixebitin jî hûn nagihîjin wê** ne kadar çalışsanız da ona yetişemezsiniz ~ **qas bike** *g/h* ancak (olsa olsa, en çok, daha çok, güçlükle) ~ **qas dibe** (an jî **çi qas e**) **ew zane** her ne ise (ne kadar ise, tutarı ne ise) ~ **qas çê ye esil dê ye** asıl olan annedir, eğitici olan annedir ~ **qas ~ qas in?** kaça kaç? (oyunda tarafların aldığı sayı veya dereceyi sormak için) ~ **qas dûr e bi nûr e** gözden ırak olan gönülden de ırak olur (Türkçedeki deyimin tersi olarak düşünmek lazım) ~ **qas kirin** (an jî **girê dan**) tutmak, etmek (para toplamı ...-e varmak) * **tiştên ku te kirîbû çi qas girê dabû?** aldığın şeyler ne kadar tutmuş? ~ **qas pak e esil mak e** asıl olan annedir, eğitici olan annedir ~ **qasî pirtir e ew qasî çêtir e** çokluk her zaman iyidir ~ **qeder** ne kadar ~ **qewimî** ne çıkar (ne zararı var) * **di roja teng de me çar pênç qiruş ji yekî stend çi qewimî?** dar günde birinden üç beş kuruş almışım ne çıkar? ~ **qewî? 1)** hayırdır? **2)** neden ne oldu ki? ~ **qisûra wê heye?** (bir yerin) suyu mu çıktı? ~ **qîmeta (...) heye 1)** ne kiymeti var ki **2)** ne olacak! ~ **re** ne demeye (niçin) ~ **serê xwe li serê diêşînî** akıl var, yakın var (veya akıl var, izan var) ~ **seyr e** ilâhi, ne tuhaf ~ **teba ye** ne menem şey ~ **tê milê te bike** elinden geleni ardına koma ~ **tê serê quling ji qîrîna quling e** bülbülün çektiği dili belâsı ~ **tê serê wî bila bê serê wî** ne hali varsa görsün ~ **tişt e** ne menem şey ~ **(...) xweş** ne hoş, ama ne * **çi fîlmekî xweş!** ama ne film! ~ **xweş û çi hal** ne âlâ ne âlâ ~ **ye** neci * **ew çi ye ?** o neci ? ~ **zerara (wî) heye?** ne çıkar * **di roja teng de me çar pênç qiruş ji yekî stend çi zerara wî heye?** dar günde birinden üç beş kuruş alınışım ne çıkar?

**çib** *h* **1.** çabuk **2.** hızlı, hızlı bir şekilde ~ ~ çabuk çabuk, hızlı hızlı

**çibik** *rd* canlı, hareketli

**çibikî** *m* canlılık, hareketlilik

**çiç (I)** *b* tuh, tuh tuh

**çiç (II)** *n* **1.** mamiş (çocuk dilinde meme) **2.** meme ucu (çocuk dilinde)

**çiçe** *b* keçi kovma ünlemi

**çiçelan** *argo/m* am (kadin cinsel organı)

**çiçik** *n* **1.** emcek, emcik, cicik, meme **2.** meme ucu **3.** meme (vücudun herhangi bir yerinde oluşmuş küçük çıkıntı) * **çiçikê bawesîrê** basur memesi **4.** baloncuk ~ **dan** balon vermek, baloncuk vermek ~ **dan (yekî)** -e meme vermek ~**a bawesîrê** *ant* basur memesi ~**a lêvê** üst dudak çurunun altındaki çıkıntı

**çiçikdar** *rd* memeli

**çiçikê çav** *ant* göz yaşı etçiği (veya memesi)

**çiçikok** *ant/n* memecik

**çiçikokî** *rd* mememsi

**çiço** *n* mamiş, emcik (çocuk dilinde meme)

**çifkirin** *m* sağma

**çif kirin** *l/gh* sağmak

**çiflîs** *nd/rd* yalancı

**çiflîsî** *m* yalancılık

**çift (I)** *rd* uğursuz

**çift (II)** *rd* çift (nesneler için; birbirini tamamlayan iki tekten oluşan)

**çift agir** *sp* çift atış

**çiftavêtin** *m* çifteleme

**çift avêtin** *l/gh* çiftelemek

**çiftcamî** *rd* çift camlı

**çifte (I)** *m* çifte (at, katır ve eşeğin arka ayaklarıyla vuruşu, tekme)

**çifte (II)** *rd* **1.** çifte (ikisi bir arada bulunan veya ikili) **2.** *m* çifte (iki namlulu av tüfeği)

**çifte avêtin** *l/gh* çifte atmak, tekmelemek

**çifte berdan** *l/gh* çifte atmak (çifteyle sıkmak)

**çiftexas** *n* 1. patiska **2.** *rd* patiska (patiskadan yapılmış şey)

**çiftî** *m* uğursuzluk

**çift kêl** *nd* çift dikiş

**çig** *g* çünkü

**çigsûr** *bot/m* çağır otu

**çigûn** *m* kazan (buhar makinelerinde, kalorifer tesisatlarında suyun kaynatıldığı kap) * **çigûna dûkelê** buhar qazanı

**çih** *n* koşe

**çihîz** *m* fışek, mermi

**çijimeretî** *m* bana necilik

**çijvijandin** *m* sağa sola koşuşturma

**çijvijandin** *l/gh* sağa sola koşuşturmak

**çijvijîn** *m* sağa sola koşuşma

**çijvijîn** *l/ngh* sağa sola koşuşmak * **wekî kar û**

berxan li hev diçijvijîn kuzu ve oğlaklar gibi sağa sola koşuşuyorlardı
**çik (I)** *m* **1.** av avlama (gizli bir şekilde) **2.** rasgele (misket gibi oyunlarda) ~ **çû** hangisine rast gelirse
**çik (II)** *rd* **1.** dik (eğik olmayan) * **çik sekiniye** dik durmuş * **kap çik hat** aşık dik geldi **2.** dimdik **3.** dik (eğimi dike yakın) * **hevrazê çik** dik yokuş **4.** *mat* dik (birbirine dikey olan doğrulardan oluşmuş) **5.** *mec* baston gibi, baston yutmuş gibi (dimdik duran veya yürüyen) ~ **sekinî** mum gibi (uslu, kıpırtısız) ~ **sekinîn** 1) dik durmak, dimdik durmak 2) dikilip durmak (veya kalmak) ~ **û pik** (an jî vik) kazık gibi (dimdik ve sert)
**çik (III)** *m* kesilme (su için)
**çik (IV)** *m* yetenek, kabiliyet
**çik (V)** *n* dığdık, dızdık (akrabalığın uzak olduğunu anlatır) ~ê ~ dığdığının dığdığı, dızdığının dızdığı * **ev kurê çikê çikê min e** bu benim dızdığımın dızdığının oğludur
**çik (VI)** *n* kenar, kıyı * **çikê behrê** deniz kıyısı
**çika** *g* **1.** hele * **çika bila ew roj bê** hele o gün gelsin (özellikle, hiç olmassa, her şeyden önce nalmanda) **2.** hele (uyarma, korkutma veya vaat anlatır) ~ **tu lê** hele bak
**çikan** *m* çekilme (suyun çekilmesi, kuruması)
**çikandin (I)** *m* **1.** dikmek (bir cismi dik olarak durdurma) **2.** dikme (yetiştirmek için bir bitkiyi toprağa yerleştirme) **3.** saplama
**çikandin (II)** *m* çemreme, sıvama (kol veya etekleri; yukarıya çekekip toplama veya kıvırma)
**çikandin (III)** *m* **1.** kesme, kesiş, kurutma, kurutuş (suyun kesilmesini sağlama) **2.** köreltme (soyunun bitmesine sebep olma)
**çikandin (I)** *l/gh* **1.** dikmek (bir cismi dik olarak durdurmak) * **direk çikandin** direk dikmek **2.** dikmek (yetiştirmek için bir bitkiyi toprağa yerleştirmek) **3.** saplamak
**çikandin (II)** *l/gh* çemremek, sıvamak (kol veya etekleri; yukarıya çekekip toplamak veya kıvırmak) * **dawa xwe çikand** eteğini çemredi * **daw û delingan biçikîne** etek ve paçalarını sıva
**çikandin (III)** *l/gh* **1.** kesmek, kurutmak (suyun kesilmesini sağlamak) * **ava newalê biçikînin** derenin suyunu kurutun **2.** köreltmek (soyunun bitmesine sebep olmak)
**çikandî (I)** *rd* dikili, saplanık * **kêra çikandî** dikili bıçak
**çikandî (II)** *rd* sıvalı (kol veya parça için; yukarıya çekikilip kıvrılmış olan)
**çikandî (III)** *rd* kesik, kurutulmuş (suyu kesilmiş olan)
**çikane** *h* **1.** dikine, dikme, dik durumda **2.** *rd* dikçe
**çikbûn (I)** *m* dikelme, dikilme
**çikbûn (II)** *m* su kesilme
**çik bûn (I)** *l/ngh* dikelmek, dikilmek
**çik bûn (II)** *l/ngh* su kesilmek
**çikçigan** *bnr* çikçikan
**çikçigoh** *zo/m* bir kuş adı
**çikçik (I)** *m* **1.** tik tak (saat sesi için) **2.** su damla sesi
**çikçik (II)** *b* keklik çağırma ünlemi
**çikçikan** *zo/m* ağaçkakan (Picus)
**çikçikandin (I)** *m* **1.** kesme, kurutma (suyun kesilmesine sebep olma) **2.** hazırlık yapma (korku ve heyecanla)
**çikçikandin (II)** *m* çemreme, sıvama (kol veya etekleri; yukarıya çekip toplama veya kıvırma)
**çikçikandin (I)** *l/gh* **1.** kesmek, kurutmak (suyun kesilmesini sağlamak) **2.** hazırlık yapmak (korku ve heyecanla)
**çikçikandin (II)** *l/gh* çemremek, sıvamak (kol veya etekleri; yukarıya çekip toplamak veya kıvırmak) * **dawa xwe çikçikandibû** eteğini çemremişti
**çikçikandî (I)** *rd* kesik, kurutulmuş (suyu kesilmiş)
**çikçikandî (II)** sıvalı
**çikçikî** *rd* kurumuş
**çikçikîn** *m* **1.** kuruma **2.** hazırlık yapılma
**çikçikîn** *l/ngh* **1.** kurumak (akar su, göl, vb. için; suyu çekilmek, suyu kurumak) **2.** hazırlık yapılmak (korku ve heyecanla)
**çikçik kirin** *l/gh* keklik çağırmak
**çikçîkan** *zo/m* ağaçkakan (Picus)
**çikdar** *rd* kabiliyetli
**çikeçik** *m* **1.** tık tık **2.** takırtı
**çikilandin** *m* **1.** dikme (bir cismi dik olarak durdurma) **2.** dikim, dikme (yetiştirmek için bir bitkiyi toprağa yerleştirme) **3.** batırma, saplama, saplayış, sokma, sokuş (iğne, bıçak, çakı vb. için)
**çikilandin** *l/gh* **1.** dikmek (bir cismi dik olarak durdurmak) * **direk çikilandin** direk dikmek **2.** dikmek (yetiştirmek için bir bitkiyi toprağa yerleştirmek) **3.** batırmak, saplamak, sokmak (iğne, bıçak, çakı vb. için)
**çikilandî** *rd* **1.** dikili * **şiva çikilandî** dikili çubuk **2.** batık, saplı. saplanık * **kêr di zebeşê de çikilandî disekine** bıçak karpuzda saplı duruyor
**çikilîn** *rd* **1.** dikik **2.** dikleşmiş olan **3.** saplanık
**çikilîn** *m* **1.** dikilme **2.** dikleşme **3.** saplanma
**çikilîn** *l/ngh* **1.** dikilmek **2.** dikleşmek * **birûyê wî çikilîn** kirpikleri dikleşti **3.** saplanmak
**çikiyayî** *rd* kesik, kurumuş (su için)
**çikizandin** *m* **1.** saplama, dikme **2.** bir işe başlanmak için hazırlık yapma **3.** gizlice yaklaşma
**çikizandin** *l/gh* **1.** saplamak, dikmek (fide dikmek için değil, bir şeyi saplamak için) **2.** bir işe başlanmak için hazırlık yapmak **3.** gizlice yaklaşmak

**çikizîn** *m* **1.** saplanmak **2.** hazırlık yapılma **3.** gizlice yaklaşılmak (gizlice yapılan şeylere çaktırmadan yaklaşmak)
**çikizîn** *l/ngh* **1.** saplanmak **2.** hazırlık yapılmak **3.** gizlice yaklaşmak (gizlice yapılan şeylere çaktırmadan yaklaşmak)
**çikîn (I)** *m* tık
**çikîn (II)** *m* **1.** kesilme, kesiliş (ırmak, kuyu, pınar gibi yerlerde su çekilip yok olma) **2.** kuruma, kuruyuş (akar su, göl, vb. için; suyu çekilmek, suyu kuruma) **3.** çekilme (azalma veya yok olma) **4.** bağırma **5.** dikilme
**çikîn** *l/ngh* **1.** kesilmek, soğulmak (ırmak, kuyu, pınar gibi yerlerde su çekilip yok olmak) * **haya we jê heye wê av biçike?** su kesilecekmiş, haberiniz var mı? **2.** kurumak (akar su, göl, vb. için; suyu çekilmek, suyu kurumak) * **havînê ev çem diçike** yazın bu nehir kuruyor **3.** çekilmek (azalmak veya yok olmak) **4.** bağırmak * **wer çikiya** öyle bağırdı ki **5.** dikilmek
**çikîner** *rd* kurutucu
**çikîtî** *m* diklik
**çikkirin** *m* dikleştirme
**çik kirin** *l/gh* dikleştirmek
**çikkirî** *rd* dikik
**çiknez** *nd/nt* cimri
**çiknezî** *m* cimrilik
**çiknos** *nd/nt* cimri
**çiknosî** *m* cimrilik
**çiko** *h* çünkü
**çikos** *bnr* çikûz
**çikosî** *bnr* çikûzî
**çikot** *rd* cimri, var yemez
**çikotbûn** *m* cimrileşme
**çikot bûn** *l/ngh* cimrileşmek
**çikotî** *m* cimrilik ~ **kirin** cimrilik etmek
**çikotîbûn** *m* **1.** cimrileşme **2.** cimrilik
**çikû** *h* çünkü, zira
**çikûd** *nd/nt* cimri
**çikûdî** *m* cimrilik
**çikûrandin** *m* çemrenme, sıvama (kol veya parça için; yukarıya çekip toplama veya kıvırma)
**çikûrandin** *l/gh* çemrenmek, sıvamak (kol veya parça için; yukarıya çekip toplamak veya kıvırmak)
**çikûrandî** *rd* sıvalı (kol veya parça için; yukarıya çekilip kıvrılmış olan)
**çikûrîn** *m* çemrenme, sıvanma
**çikûrîn** *l/ngh* çemrenmek, sıvanmak
**çikûs** *nd/nt* cimri, var yemez
**çikûsbûn** *m* cimrileşme
**çikûs bûn** *l/ngh* cimrileşmek
**çikûsî** *m* cimrilik ~ **kirin** cimrilik etmek
**çikûsîbûn** *m* **1.** cimrileşme **2.** cimrilik
**çikûstî** *m* cimrilik
**çil (I)** *n* **1.** kırk (40, XL) **2.** *rd* kırk (dört kere on, otuz dokuzdan bir artık) **3.** *mec* kırk (pek çok) ~ **carî hatin kirin** kırklanmak ~ **carî kirin** kırklamak (bir şeyi kırk defa yapmak veya birçok defa sudan geçirmek) ~ **dan** kırkını vermek ~ **pere** kırk para (bir kuruş) ~ **rojî** kırklı (kırk gününü doldurmamış) ~ **sal** kırk yıl (çok uzun bir süre) * **ez çil salî jî bixebitim nikarim vî qerzî bidim** kırk yıl çalışsam da bu borcu ödeyemem ~ **sal e** kırk yıllık (çok eski, köklü) * **mêrik çil sal e ku doktor e, tu çi dibêjî?** adam kırk yıllık doktordur, sen ne diyorsun? ~ **salî** kırklık, kırk yaşında olan ~ **sal kul û qotik di gund de bû, ecelê (wî) hat hîna mir** kırk yıl kıran olmuş, eceli gelen ölmüş **~ê ereb û firîkê nokan** al kiraz üstüne kar yağmış **~ê (yekî) hilanîn** kırkını çıkarmak **~ê (yekî) qedîn** kırkı çıkmak ~ **û silûk** çile **~ê (yekê) pê de çûn** ilkinden sonra doğum yapan kadın **~ê wan ketin hev** kırkları karışmış olmak **ji ~ê xwe derketin** kırkını doldurmak **~ê xwe bixwe** öteye kay, biraz kay (şaka) **~ê xwe qedandin 1)** kırkını çıkarmak **2)** kırklamak (loğusa veya yeni doğmuş bebek için; kırk gününü tamamlamak)
**çil (II)** *nd* tepe, dağ ~ **û çiya** dağ bayır
**çil (III)** *bj/n* loğusa, lağusa dönemi
**çil (IV)** *rd* **1.** nefsine düşkün, şikemperver, pis boğaz **2.** ekti (her yiyeceği canı çeken) **3.** *m* nefis (insanların yeme içme gibi ihtiyaçlarının tümü)
**çil (V)** *n* filiz, fidan * **çilê darê** ağaç fidanı
**çil (VI)** *zo/m* yarasa (Vespertilio)
**çilag** *nd/nt* çulha, dokumacı
**çilagî** *m* çulhalık, dokumacılık
**çilak** *n* **1.** filiz, fidan **2.** ince uzun değnek
**çila mehîrê** *zo/nd* yarasa
**çilan** *n* yen (giysi kolu) * **destên xwe şûştin, ziwa kirin û çilanên xwe daxistin** ellerini yıkadı, kuruladı ve yenlerini indirdi
**çilanî (I)** *m* kırklık
**çilanî (II)** *rd* nefsanî
**çilapekirin** *m* hızlı koşma
**çilape kirin** *l/gh* hızlı koşmak
**çilapek** *m* **1.** kar ve yağmurun beraber tane halinde yağması **2.** yağmur damlası
**çilbira pîvazan** *nd* yeşil soğan, yağ ve salçadan yapılan yemek
**çilbisk** *bot/m* **1.** yenilen bir bitki **2.** kırk pürçekli * **çilbiskê çilkeziyê kırk** pürçekli kırkörüklü
**çilboq** *zo/n* cırboğa (Dipus Caegyptius)
**çilçil** *zo/m* yarasa (Vespertilio)
**çilçilandin** *m* yıpratma
**çilçilandî** *rd* yıpratılmış olan
**çilçilandin** *l/gh* yıpratmak
**çilçilîn** *m* yıpranma
**çilçilîn** *l/ngh* yıpranmak * **şalê wî paqij lê çilçilîbû** pantolonu temiz ama yıpranmıştı
**çildan** *m* zıplama

**çil dan** *l/gh* zıplamak
**çildarî** *rd* lağusalı
**çildergûş** *rd* çok çocuklu aile
**çilderî** *rd* kırk kapının ipini çeken kimse, çok gezip tozan kimse
**çildev** *rd* güvenilmez, kancık
**çildevî** *m* kancıklık (kancıkça davranış) ~ **kirin** kancıklık etmek (veya kancıklık yapmak)
**çildevkî** *h* kancıkça
**çile** *n* **1.** karakış (20 günü aralık ayına 20 günü de ocak ayına denk düşen dönem **2.** yazın en sıcak 40 günü **3.** çile (derviş ve şeyh adayların 40 gün süre ile tek başlarına hücrede geçirdikleri zahmetli ve perhizli dönem) **4.** ocak (yılın 31 gün çeken birinci ayı) **~yê havînê** (an jî **payîzê)** *mec* sıkıntı zamanı **~yê xwe kişandin** (an jî **tije kirin)** çile çıkarmak (veya doldurmak)
**çileçep** *rd* sapa * **riyên çileçep** sapa yollar
**çileçil** *rd* kırkar
**çiledar** *rd* lağusalı kadın
**çilegir** *nd/nt* kırk gün oruç tutan (Yezidilikte)
**çilek 1.** nefsine düşkün, şikemperver, pis boğaz **2.** ekti, yemek düşkünü (her yiyeceği canı çeken)
**çilekêş** *nd/nt* çileci
**çilekêşî** *m* çilecilik, fakirizm
**çilekî** *m* ektilik, şikemperverlik ~ **tê de dîtin** ektiliğini tespit etmek
**çilekî kirin** *l/gh* ektilik yapmak, şikemperverlik yapmak
**çilektî** *bnr* çilekî
**çile lê qelibîn** *l/bw* loğusa humasına tutulmak
**çilem (I)** *rd* becerikli
**çilem (II)** *rd* kırkıncı
**çilemî** *m* beceriklilik
**çilemîn** *rd* kırkıncı
**çilepelk** *m* dönemeç, viraj
**çileqe** *rd/nt* geveze, boşboğaz (çenesi düşük)
**çileqetî** *m* gevezelik, boşboğazlık
**çilesir** *m* kırk ikindi, ikindiler (Mart'ın 22'sinde başlayarak kırk gün sürmekte)
**çilesrîn** *m* kırk ikindi
**çil ewliya** *nd* kırklar
**çilexane** *m* çilehane, çile çekilen yer
**çileyê ereb** *nd* kara kış
**çileyê reş** *nd* kara kış
**çileyê zivistanê** *nd* erbain, kara kış (kırk günlük kış dönemi)
**çilêçile** *zo/m* yarasa (Vespertilio)
**çilêg** *bnr* çilag
**çilê havînê** *nd* Haziran ayının bitiminden 20 Ağustos'a kadar süren ve havaların çok sıcak olduğu dönem
**çilê hişk** *nd* kuru soğuğun yoğun olduğu dönem
**çilê mehîrê** *zo/m* yarasa (Vespertilio)
**çilêng** *n* sümük * **çilûngê xwe bimale** sümüğünü sil
**çilêz** *rd* obur, doymayan
**çilê zivistanê** *nd* zemheri
**çilêzî** *m* oburluk
**çilêzîn** *rd* yapışıcı, yapışkan
**çilfis** *rd* aşıran, çırpan
**çilfisandin 1.** çırpma (sulu yiyecekleri, hızla ve sürekli bir şeyle karıştırma) **2.** aşırma, çırpma
**çilfisandin** *l/gh* **1.** çırpmak (sulu yiyecekleri, hızla ve sürekli bir şeyle karıştırmak) **2.** aşırmak, çırpmak
**çilfisîn** *m* **1.** çırpılma (sulu yiyecekleri, hızla ve sürekli bir şeyle karıştırılma) **2.** aşırılma
**çilfisîn** *l/gh* **1.** çırpılmak (sulu yiyecekleri, hızla ve sürekli bir şeyle karıştırılmak) **2.** aşırılmak
**çilgezik** *zo/nd* bir böcek adı
**çilgul** nd bir hali türü
**çilik (I)** *ant/m* klitoris
**çilik (II)** *n* oyun için, yere dikilen üç çatallı çubuk
**çilik (III)** *rd* lağusalı
**çilikandin** *m* damlatma
**çilikandin** *l/gh* damlatmak
**çilikîn** *m* damlama
**çilikîn** *l/ngh* damlamak
**çilimçor** *nd* **1.** yol geçen hanı **2.** yolgeçen **3.** giden geleni çok olan
**çilingar** *nd/nt* çilingir
**çilingarî** *m* çilingirlik
**çilingdar** *nd/nt* **1.** bakırcı (bakırdan kap kacak yapan) **2.** kazancı
**çilingdarî** *m* bakırcılık
**çilingir** *nd/nt* ince işler, bakırcılık, gümüşçülük yapan kimse
**çilingirxane** *m* ince işlerin yapıldığı iş yeri
**çiliqandin** *m* **1.** cıvıtma, cılk etme **2.** şımartma
**çiliqandin** *l/gh* cıvıtmak, cılk etmek * **mêjî çiliqandiye** beynini cılk etmiş **2.** şımartmak
**çiliqîn** *m* **1.** cıvıtma, cılk olma **2.** şımarma
**çiliqîn** *l/ngh* **1.** cıvıtmak, cılk olmak **2.** şımarmak
**çilivilî** *m* gürültü, patırtı, şamata
**çilizîn** *m* otlanma, başkaların sırtından geçinme
**çilizîn** *l/ngh* otlanmak (argo), başkaların sırtından geçinmek
**çilî (I)** *rd* **1.** kırklı (kırk gününü doldurmamış) **2.** emzik çocuğu
**çilî (II)** *rd* **1.** loğusalı **2.** *m* loğusalık
**çilî (III)** *m* ektilik, şikemperverlik
**çilî (IV)** *bnr* çilo
**çilî boz** *nd* süt beyazı
**çilîçilî** *zo/m* yarasa (Vespertilio)
**çilîn** *rd* loğusalı
**çilîngir** *n* çilingir, tavşan anahtarı
**çilînî** *rd* kırkını doldurmamış olan
**çilîs** *rd* nefsine düşkün, pis boğaz
**çilîsî** *m* nefsine düşkün olma, pis boğazlık

**çilîtî** *m* loğusalık (loğusa olma durumu)
**çilîtî lê qelibîn** *l/bw* (loğusayı) al basmak, loğusa albastı hastalığına yakalanmak
**çilîtk** *m* çapak (göz çapağı)
**çilîtkgirtin** *m* çapaklanma
**çilîtk girtin** *l/gh* çapaklanmak
**çilîvilî** *rd* karmakarış, karmakarışık, karman çorman ~ **bûn** karman çorman olmak ~ **kirin** karman çorman etmek
**çilk (I)** *m* kıvılcım
**çilk (II)** *m* **1.** damla * **çilkê avê** su damlası **2.** yağmur damlası **3.** şıpırtı (damla sesi) **4.** su sıçrantısı
**çilkandin** *m* **1.** damlatma **2.** şıpırdama
**çilkandin** *l/gh* **1.** damlatmak **2.** şıpırdamak
**çilkîn** *m* **1.** damlama **2.** şıpırdanma
**çilkîn** *l/ngh* **1.** damlamak **2.** şıpırdanmak
**çilkkirin** *m* **1.** damlama **2.** şıpırdanma
**çilk kirin** *l/gh* **1.** damlamak **2.** şıpırdanmak
**çilêqelibîn** *bj/m* loğusa humması
**çil lê qelibîn** *l/bw* (loğusayı) al basmak, loğusa humasına tutulmak (loğusa albastı hastalığına yakalanmak)
**çil libî** *rd* kırklı
**çilm** *m* sümük
**çilmasî** *bot/m* yenilir bir bitki
**çilmêre** *m* **1.** arkıt (kapıların arkasına konulan kalın kuşak) **2.** kaldıraç
**çilmêrî** *bnr* çilmêre
**çilmik** *m* sümük, sümükcük
**çilmikî** *rd* sümüksel
**çilmin** *rd* sümüklü (burnundan sürekli sümük akan)
**çilmisan** *m* solma
**çilmisandin** *m* **1.** soldurma **2.** pörsütme
**çilmisandin** *l/gh* **1.** soldurmak * **tavê rengê perdeyan çilmisandin** güneş perdelerin rengini aldı **2.** pörsütmek
**çilmisandî** *rd* soluk, solgun
**çilmisî** *rd* **1.** soluk, solgun **2.** solgun (kumaş, giysi vb. için)
**çilmisîbûn** *m* solgunlaşma, soluklaşma
**çilmisî bûn** *l/ngh* solgunlaşmak, soluklaşmak
**çilmisîman** *m* **1.** soluk kalmak **2.** pörsük halde kalma
**çilmisî man** *l/ngh* **1.** soluk kalmak **2.** pörsük halde kalmak
**çilmisîmayî** *rd* **1.** soluk kalmış **2.** pörsük halde
**çilmisîn** *m* **1.** solma, soluş **2.** solma (diriliğini, tazeliğini veya parlaklığını yitirme) **3.** pörsüme
**çilmisîn** *l/ngh* **1.** solmak **2.** solmak (diriliğini, tazeliğini veya parlaklığını yitirmek) **3.** pörsümek
**çilmisîtî** *m* solgunluk
**çilmisok** *rd* solgun
**çilmisokî** *rd* **1.** solgunca **2.** soluk, solgun **3.** *nd* solgun, soluk (kimse)
**çilmisokîbûn** *m* solgunlaşma, soluklaşma
**çilmisokî bûn** *l/ngh* solgunlaşmak, soluklaşmak
**çilmisokîkirin** *m* solgunlaştırma, soluklaştırma
**çilmisokî kirin** *l/gh* solgunlaştırmak, soluklaştırmak
**çilmisokîtî** *m* solgunluk, solukluk
**çilmî** *rd* sümüklü
**çilmo** *rd* sümüklü (erkek)
**çilmok** *rd* sümüklü (burnundan sürekli sümük akan)
**çilmoyî** *rd* sümüksü
**çilo (I)** *rd* **1.** nasıl (bir kimse, bir olay veya bir konu için) * **hûn kaxizekî çilo dixwazin?** nasıl kâğıt istiyorsunuz? * **keçeke çilo ye?** nasıl kızdır? **2.** *h* nasıl (bir işin ne biçimde, hangi yolla olduğunu belirtmek için kullanılır) * **min çilo û ji bo çi pirs pirsiye ez dizanim** ben soruyu nasıl sorduğumu, niçin sorduğumu biliyorum **3.** nasıl (bir hareketin yanlış biçimine duyulan şaşkınlığı belirtir) * **hûn çilo hatin vir?** siz buraya nasıl geldiniz? * **piştî van kirinên di wî ez dê çilo nexeyîdim?** bu yaptıklarından sonra nasıl kızmam? **5.** nasıl (ne kadar çok) * **tu bizanî ku ez çilo ji te hez dikim** seni nasıl seviyorum bir bilsen **6.** nasıl (elbette, kesinlikle) * **tu lê binêre wê çito here** bak nasıl gidecek **7.** nasıl (ben sana dememiş miydim, gördün mü?) * **çilo ye, pirtûk a kê ye?** nasıl, kitap kiminmiş? **8.** nasıl (işin zorunlu olduğunu belirtir) * **çilo naçe dibistanê?** okula nasıl gitmez? **9.** *b* nasıl ('ne dediniz' veya 'iyi mi, beğendiniz mi' anlamında) * **çilo ye, baş e?** nasıl, iyi oldu mu? * **çilo, hûn dikarin careke din jî bibêjin?** nasıl, bir daha söyler misiniz? ~ **be 1)** nasıl olsa * **sibehê çilo be wê bê** nasıl olsa yarın geleceksin * **çilo be dê rojek ev heywan bikirana qurban** bir gün nasılsa bu hayvan kurban edilecekti **2)** ne kadar olsa * **çilo be diya te ye** ne kadar olsa annen ~ **bû** nasıl oldu ~ **bûye** nasıl olmuşsa * **bê çilo bûye, li şikandina şûşeyê werqiliye** nasıl olmuşsa, şişenin kırıldığının farkına varmış ~ **çêbû** (an jî **qewimî**) nasıl oldu * **bûyer çilo qewimî?** olay nasıl oldu? ~ **kirin** nasıl etmek (veya nasıl yapmak) * **em çilo bikin?** nasıl yapalım? ~ **ku** nasıl ki
**çilo (II)** *n* **1.** meşe yaprağı (dallarla kesilerek, demet halinde kurutup kışın hayvan yemi olarak kullanılır) **2.** askı (ipek böceğinin kozasını sarması için yanına konulan çalı çırpı)
**çilobir** *nd/nt* **1.** meşe dallarını yapraklarıyla kesen kimse **2.** *n* bu yaprakları kesme yeri
**çilo çilo** *h* kırkar, kırkar
**çilokebab** *n* bir tür kebap
**çilole** *m* küçük tencere
**çilolik** *m* çok küçük tencere

**çilon** *bnr* çilo (I)
**çilonayî** *m* medenî hal
**çilonek** *bnr* çilek
**çilonî** *m* nitelik
**çilopek (I)** *m* çisenti
**çilopek (II)** *nd* ince dallar
**çilopope** *m* zirve, en yüksek nokta
**çiloreş** *n* ilk sonbahar
**çiloskî** *bnr* çilek
**çilovanî** *nd/nt* meşe ve palamut yapraklarını kesip hayvan yemi olarak kullanan kimse
**çiloyî** *m* sağanak, sağnak yağış
**çilp** *m* damla
**çilpa** *zo/n* kırkayak (Julus terrestris)
**çilpandin** *m* çırpma, aşırma
**çilpandin** *l/gh* çırpmak, aşırmak
**çilparêz** *nd/nt* çilekeş
**çilpê** *zo/n* kırkayak
**çilpik** *n* kanca
**çilpikkirin** *m* kancalama
**çilpik kirin** *l/gh* kancalamak
**çilpikkirî** *rd* kancalı, kancalanmış
**çilpîn** *m* çırpılma, aşırılma
**çilpîn** *l/ngh* çırpılmak, aşırılmak
**çilptazî** *rd* **1.** çıplak, dımdızlak **2.** *h* çırçıplak, çırılçıplak
**çilptazîtî** *m* çırçıplaklık, çırılçıplaklık
**çilq (I)** *bnr* çilk (II)
**çilq (II)** *rd* şımarık
**çilqandin** *m* şımartma
**çilqandin** *l/gh* şımartmak
**çilqijî** *rd* deli dolu, ne yaptığını bilmeyen kimse
**çilqijîtî** *m* deli doluluk
**çilqitk** *bnr* mozeqirtik
**çilqîn** *m* şımarma
**çilqîn** *l/gh* şımarmak
**çilqûn** *rd* güvenilmez, kaypak, kancık
**çilqûnî** *m* kancıklık (kancıkça davranış) ~ **kirin** kancıklık etmek (veya kancıklık yapmak)
**çilqûnkî** *h* kancıkça
**çilroje** *rd* çilehanede çile çeken kimse
**çiltûk** *m* çeltik
**çilûng** *n* sümük * **çilûngê xwe bimale** sümüğünü sil
**çilûngî** *rd* sümüklü (burnundan sürekli sümük akan)
**çilûs** *nd/nt* cimri
**çilûsandin** *bnr* çirisandin
**çilûsî** *m* cimrilik
**çilûsîn** *bnr* çirisîn
**çilûx** *zo/m* hindi
**çilûz** *nd/nt* **1.** cimri **2.** oyunda kaybetmiş veya yenilmiş kimse
**çilûzbûn** *m* cimrileşme
**çilûz bûn** *l/ngh* cimrileşmek
**çilvilandin** *m* ışıldatma
**çilvilandin** *l/gh* ışıldatmak
**çilvilîn** *m* ışıldama
**çilvilîn** *l/ngh* ışıldamak
**çilvilok** *rd* ışıldak, ışıltılı
**çilvir** *m* koca yalan, yalan dolan şey
**çilviran (I)** *m* soysuzlaşma, yozlaşma, dejenere olma
**çilviran (II)** *m* paralama
**çilvirandin (I)** *m* soysuzlaştırma, yozlaştırma
**çilvirandin (II)** *m* paralama
**çilvirandin (I)** *l/gh* soysuzlaştırmak, yozlaştırmak
**çilvirandin (II)** *l/gh* paralamak
**çilvirandî (I)** *rd* soysuzlaştırılmış, yozlaştırılmış, dejenere etirilmiş
**çilvirandî (II)** *rd* paralanmış
**çilvirî (I)** *rd* yozlaşmış
**çilvirî (II)** *rd* paralanmış
**çilvirîn (I)** *m* soysuzlaşma, yozlaşma, dejenere olma
**çilvirîn (II)** *m* paralanma
**çilvirîn (I)** *l/ngh* soysuzlaşmak, yozlaşmak, dejenere olmak
**çilvirîn (II)** *l/ngh* paralanmak
**çilvirîş** *rd* soysuz, yoz, dejenere
**çilvirîtî** *m* soysuzluk, yozluk
**çilvizî** *rd* yalan dolana baş vurarak çalıp çırpan
**çilwerî** *m* abartı
**çilwilandin** *m* ışıldatma
**çilwilandin** *l/gh* ışıldatmak
**çilwilîn** *m* ışıldama
**çilwilîn** *l/ngh* ışıldamak
**çilziman** *rd* **1.** güvenilmez, yüze gülücü **2.** dili bir pabuç kadar uzun **3.** geveze
**çilzimanî** *m* **1.** güvenilmezlik, yüze gülücülük **2.** dili bir pabuç kadar uzun olma **3.** gevezelik
**çim (I)** *bnr* sim
**çim (II)** *n* tek adım atlama
**çim (III)** *n* **1.** kenar, uc * **çimê wê şikestiye** kenarı kırılmış **2.** uc, zirve
**çima** *g* **1.** meğer * **çima ew zilam ne diz bûne!** meğer adamlar hırsızlarmış * **çima ne polîs in** meğer polis değillermiş **2.** *h* neden, niçin, niye * **te çima ev kir?** bunu neden yaptın? **3.** ne diye, nedir ki (hangi nedenle) **4.** niye ~ **ji (yekî) venagerin?** niye onu rahat bırakmıyorlar?
**çimam** *m* bilmece
**çimamik** *m* bilmece
**çiman** *nd* herhangi bir şeyin bir parçasının kesilmesi
**çimbil** *bnr* çembil
**çimçik** *nd* yağmur yağması için tılsımlı temsil
**çimçimandin (I)** *m* **1.** mırıldama (alçak sesle, kendi kendine bir şeyler söyleme) **2.** kem küm etme, mırın kırın etme
**çimçimandin (II)** *m* **1.** kurutma (suyun kesilmesini sağlama) **2.** büzüştürme, kurutmak (suyunun çekilmesi sonucu)

**çimçimandin (I)** *l/gh* 1. mırıldamak (alçak sesle, kendi kendine bir şeyler söylemek) 2. kem küm etmek, mırın kırın etmek
**çimçimandin (II)** *l/gh* 1. kurutmak (suyun kesilmesini sağlamak) 2. büzüştürmek, kurutmak
**çimçimandî** *rd* 1. kurutulmuş (suyu kesilmiş) 2. büzüşük (suyunun çekilmesi sonucu)
**çimçimî** *rd* 1. kurumuş 2. büzüşük (suyunun çekilmesi sonucu)
**çimçimîn (I)** *m* mırıldanma
**çimçimîn (II)** *m* 1. kuruma (akar su, göl, vb. için; suyu çekilme, suyu kuruma) 2. büzüşme, kuruma
**çimçimîn (I)** *l/ngh* mırıldanmak
**çimçimîn** *l/ngh* 1. kurumak (akar su, göl, vb. için; suyu çekilmek, suyu kurumak) 2. büzüşmek, kurumak * **lêvên wî çimçimîne** dudakları büzüşmüş
**çimçîr** *m* 1. mancınık 2. salıncak
**çimeçim** *m* 1. mızmızlanma, mızmızlık 2. *h* kem küm, mırın kırın
**çimeçimkirin** *m* mızmızlama
**çimeçim kirin** *l/gh* mızmızlanmak
**çimika guh** *nd* sarmal
**çiminjê** *rd* neme lâzımcı
**çiminjêtî** *m* neme lâzımcılık
**çimir** *n* tahterevalli
**çimkî** *h* çünkü
**çimkoj** *nd/nt* tamahkâr
**çimkojî** *m* tamahkârlık
**çimrandin** *m* parmakla basıp ezme
**çimrandin** *l/gh* parmakla basıp ezmek
**çimtiyan** *nd* atlet
**çinandin (I)** *m* 1. biçme, kesme 2. koparma, derme 3. koparma, koparış, dalından koparma (daldan, ağaçtan alıp toplama)
**çinandin (II)** *m* 1. dokuma (tezgahta kumaş yapma) 2. işleme, nakışlama, nakşetme
**çinandin (I)** *l/gh* 1. biçmek, kesmek 2. koparmak, dermek 3. koparmak, dalından koparmak (daldan, ağaçtan alıp toplamak) * **ketine bexçe mêwe çinandine** bahçeye girip yemişleri koparmışlar
**çinandin (II)** *l/gh* 1. dokumak (tezgahta kumaş yapmak) 2. işlemek, nakışlamak, nakşetmek
**çinandî (I)** *rd* 1. koparık, koparılmış 2. biçilmiş olan
**çinandî (II)** *rd* 1. dokunuk, dokunmuş olan 2. işlenmiş, nakşedilmiş olan
**çinar** *bot/m* çınar, kavlağan (Platanus)
**çinarok** *bot/m* yaprakları çınar ağacınınkine benzeyen, uzun boylu otsu bir bitki, taze iken hayvan yemi olarak kullanılır
**çinaz** *nd/nt* cimri
**çinazî** *m* cimrilik
**çincalî** *m* salıncak, küçük salıncak
**çincîl** *m* salıncak şeklinde beşik
**çincîlan** *m* salıncak şeklinde beşik
**çincîrik** *m* salıncak
**çinçil** *m* bir tür salıncak
**çinçolek** *m* salıncak
**çindê** *m* atlambaç
**çindik** *m* 1. atlama, sıçrama 2. hoplama, zıplama ~ **dan** 1) atlamak 2) zıplamak ~ **li xwe xistin** zıplamak
**çindik çindik** *h* zıp zıp
**çindikdan** *m* 1. atlama (belli bir yükseklikte aşırma) 2. *sp* atlama 3. sıçrama (ayaklarla, birdenbire ve kuvvetle yeri teperek hızla yukarıya veya ileriye atılma) 4. hoplama, zıplama 5. kalgıma (fırlama, sıçrama) 6. kalgıma (öfkeyle kalkma) 7. sekme (tek veya iki ayak üzerinde sekme) 8. *mec* atlaya zıplaya (isteme)
**çindik dan** *l/gh* 1. atlamak (belli bir yükseklikte aşırmak) 2. sıçramak (ayaklarla, birdenbire ve kuvvetle yeri teperek hızla yukarıya veya ileriye atılmak) 3. hoplamak, zıplamak 4. kalgımak (fırlamak, sıcramak) 5. kalgımak (öfkeyle kalkmak) 6. sekmek (tek veya iki ayak üzerinde sekmek) 7. *mec* atlaya zıplaya (istemek)
**çindikdayîn** 1. atlayış (belli bir yükseklikte aşırma) 2. sıçrayış 3. hoplayış, zıplayış 4. kalgıma (fırlama, sıçrama) 5. kalgıma (öfkeyle kalkma) 6. sekiş (tek veya iki ayak üzerinde sekme) 7. *mec* atlaya zıplaya (isteme)
**çindirik** *m* zıplama ~ **dan** zıplamak
**çineçin** *m* çene çalma ~ **kirin** çene çalmak
**çinedîtî** *rd* görmemiş
**çinedîtîbûn** *m* görmemişlik
**çinedîtk** *rd* buldumcu, görmemiş
**çinedîtkbûn** *m* buldumcu olma, görmemiş olma
**çinedîtk bûn** *l/ngh* buldumcu olmak, görmemiş olmak
**çing (I)** *m* 1. tın, tınlama sesi 2. tıngır
**çing (II)** *m* hoplama, zıplama
**çing (III)** *rd* az, azıcık * **çingekê bîne em bixwin** azcık getir yiyelim
**çingdan** *m* hoplama, zıplama
**çing dan** *l/gh* hoplamak, zıplamak
**çingdayîn** *m* hoplayış, zıplayış
**çingal** *n* çengel
**çingaldar** *rd* çengelli
**çingalkirin** *m* çengelleme
**çingal kirin** *l/gh* çengellemek
**çingalkirî** *rd* çengelli, çengellenmiş olan
**çingandin** *m* 1. çınlatma, çınlatış 2. çangırdatma 3. şangırdatma 4. tangırdatma
**çingandin** *l/gh* 1. çınlatmak 2. çangırdatmak 3. şangırdatmak 4. tangırdatmak
**çingandî** *rd* 1. çınlatılmış 2. çangırdatılmış 3. şangırdatılmış 4. tangırdatmış olan
**çingçing** *h* çan çan (çan sesi için)

**çingeçing (I)** *h* çan çan (çan sesi için)
**çingeçing (II)** *h* **1.** çın çın **2.** cangıl cungul * **çêlek bi çingeçing dihatin** inekler cangıl cungul geliyordu **3.** *m* cangıl cungul (bu biçimde gürültü) **4.** *h* şangır şangır **5.** *h* tangır tangır, tangır tungur, tıngır tıngır ~ **jê anîn** çın çın inletmek ~ **jê çûn** çın çın ötmek ~ **jê hatin** çın çın ötmek ~ **kirin** tıngırdamak ~**a şûran** kılıç şıngırtısı
**çingeçingkirin** *m* çınlama
**çingeçing kirin** *l/gh* çınlamak
çingê meryem *bot/n* tavşan kulağı (Cyclamen)
**çingil (I)** *bnr* çepil
**çingil (II)** *m* ayrıntı, detay
**çingilok** *m* ayrıntı, detay
**çingine** *bot/m* bir tür ot
**çingir** *rd* **1.** çengel gibi **2.** kıvırcık
**çingizandin** *m* **1.** büzme **2.** pişirilen etin büzülmesini, çekilmesini sağlama **3.** kıvratma
**çingizandin** *l/gh* **1.** büzmek **2.** pişirilen etin büzülmesini, çekilmesini sağlamak **3.** kıvratmak
**çingizandî** *rd* büzük
**çingizîn** *m* **1.** büzülme **2.** toplanma, büzülme, inkıbaz **3.** kıvranma **4.** pişirilen et çekilme, büzülme
**çingizîn** *l/ngh* **1.** büzülmek **2.** toplanmak, büzülmek **3.** kıvranmak **4.** pişirilen et çekilmek, büzülmek
**çingîn (I)** *fiz/m* **1.** tını, tınnet **2.** *h* dank ~ **ji guhê (yekî) çûn** kafasına dank demek, jetonü döşmek ~ **ji serê (yekî) çûn** kafasına dank demek (veya etmek)
**çingîn (II)** *m* **1.** çınlama, çınlayış **2.** çangırdama (madeni şeyler) **3.** şangırdama, şıngırdama (tabak, bardak ve benzerleri için) **4.** tangırdama, tıngırdama, tınlama
**çingîn** *l/ngh* **1.** çınlamak **2.** çangırdamak (madeni şeyler) **3.** şangırdamak, şıngırdamak (tabak, bardak ve benzerleri için) **4.** tangırdamak, tıngırdamak, tınlamak ~ **pê ketin** çınlamak, çangırdamak, şangırdamak ~ **û şingîn** şangır şungur ~ **û zingîn** tıngır mıngır
**çingînî** *m* **1.** çıngırtı **2.** çangırtı **3.** şangırtı, şıngırtı **4.** tangırtı, tıngırtı **5.** *h* dank ~ **ji guhê (yekî) hatin** kulağı çınlamak ~ **ji serê (yekî) çûn** kafasına dank demek (veya etmek), jetonu düşmek
**çingînî dan** *l/gh* çınlanmak
**çingînî jê anîn** *l/bw* **1.** çınlatmak **2.** çangırdatmak **3.** şangırdatmak **4.** tıngırdatmak
**çingînî jê hatin** *l/bw* **1.** çınlanmak **2.** çangırdamak **3.** şangırdamak **4.** tıngırdamak
**çingînîkirin** *m* çınlama
**çingînî kirin** *l/gh* çınlamak
**çingîvala** *rd* bomboş
**çingo** *bnr* **çînko**
çinik *m* simit
**çinivînî** *m* çat pat
**çinîn (I)** *m* **1.** biçme, biçim (ekini, otu orakla, tırpanla, makine ile kesme) **2.** derme **3.** koparma (koparıp toplama)
**çinîn (II)** *m* **1.** dokunma (tezgahta kumaş yapma) **2.** işlenme, nakışlama, nakşedilme
**çinîn (I)** *l/ngh* **1.** biçmek (ekini, otu orakla, tırpanla, makine ile kesmek) **2.** dermek * **were em gulan biçinin** gel gül derelim **3.** koparmak (koparıp toplamak) ~**a giya** ot biçme ~**a tirî** üzüm dermek
**çinîn (II)** *l/ngh* **1.** dokunmak (tezgahta kumaş yapmak) **2.** işlenmek, nakışlamak, nakşedilmek
**çinîna rezan** *nd* bağ bozumu
**çinîner** *nd/nt* dokumacı
**çinînerî** *m* dokumacılık
**çinkû** *g* çünkü
**çinraw** *m* dokuma
**çinûk** *rd* cimri
**çinûkî** *m* cimrilik
**çip (I)** *rd* **1.** çabuk **2.** hızlı, çevik kimse ~ ~ **1)** çabuk çabuk, acele acele **2)** *b* âlâ âlâ **3)** halay oynanırken daha hızlı daha hızlı anlamanda söylenir ~ **û peya bûn** zıng diye inmek
**çip (II)** *m* **1.** pıt, şıp (su damlasının çıkardığı ses) **2.** zıp
**çip (III)** *rd* dik
**çip (IV)** *n* penis ucu
**çipalek** *m* yağmur damlası * **çipalekên baranê** yağmur damlaları
**çipborî** *m* tüp (içine, krem, diş macunu, ilâç gibi maddeler konulan ucu burgulu plâstik veya metal boru)
**çipçik** *rd* dimdik
**çipçip** *h* **1.** çabuk çabuk, acele acele **2.** *b* âlâ âlâ **3.** halay oynanırken daha hızlı daha hızlı anlamanda söylenir
**çipçipok** *rd* **1.** atik, çevik **2.** hızlı **3.** kıpırdak, canlı hareketli * **zarokekî çipçipok** hareketli bir çocuk **4.** yürüyüşte çok hızlı olan
**çipçipokî** *h* **1.** atikçe **2.** hızlıca **3.** hareketlice, kıpırdakça **4.** *m* atiklik **5.** kıpırdaklık
**çipçipokîtî** *m* **1.** atiklik **2.** hareketlilik, kıpırdaklık
**çipeçip** *h* **1.** şıpır şıpır, pıtır pıtır (su damalasının sesi için) **2.** tıpış tıpış **3.** şıkır şıkır ~**a (yekî) bûn leyîstin 1)** şıkır şıkır oynamak **2)** *mec* şıkır şıkır oynamak, çok sevinmek
**çipik (I)** *ant/n* meme başı, meme ucu * **çipikê pêsîrê** meme ucu
**çipik (II)** *m* damla (yağmur vb. için)
**çipik (III)** *h* **1.** çabuk (yavaşın karşıtı) **2.** *rd* hızır (çabuk davranan kimse) **3.** *rd* atik, çevik **4.** *rd* kıpırdak, canlı hareketli, enerjik (güçlü ve hareketli) **5.** eline, ayağına çabuk kimse, cilasun * **wekî ~ê leyîstin** şıkır şıkır oynamak

**çipikane** *rd/h* **1.** çabukça **2.** atikçe, çevikçe **3.** kıpırdakça, hareketlice
**çipikatî** *m* **1.** çabukluk **2.** atiklik, çeviklik **3.** kıpırdaklık
**çipikbûn** *m* **1.** çabuklaşma **2.** çevikleşme **3.** ivedilenme
**çipik bûn** *l/ngh* **1.** çabuklaşmak **2.** çevikleşmek **3.** ivedilenmek
**çipikbûyîn** *m* **1.** çabuklaşma **2.** çevikleşme **3.** ivedilenme
**çipik çipik** *h* **1.** çabuk çabuk **2.** hızlı hızlı **3.** fıldır fıldır * **çavên wî di nav serê wî de çipik çipik direqisin** gözleri fıldır fıldır oynuyor
**çipikî** *m* **1.** çabukluk **2.** atiklik, çeviklik, tetiklik **3.** hareketlilik, kıpırdaklık
**çipikîbûn** *m* **1.** çabuklaşma **2.** atikleşme, çevikleşme, acarlaşma, tetikleşıne **3.** ivedilenme
**çipikî bûn** *l/ngh* **1.** çabuklaşmak **2.** atikleşmek, çevikleşmek, acarlaşmak, tetikleşmek **3.** ivedilenmek
**çipikîbûyîn** *m* **1.** çabuklaşma **2.** atikleşme, çevikleşme, acarlaşma, tetikleşme **3.** ivedilenme
**çipikkirin** *m* **1.** çabuklaştırma **2.** atikleştirme, çevikleştirme, tetikleştirme **3.** ivedileştirme
**çipik kirin** *l/gh* **1.** çabuklaştırmak **2.** atikleştirmek, çevikleştirmek, tetikleştirmek **3.** ivedileştirmek
**çipilandin** *m* **1.** budama **2.** kırpma **3.** çırpma
**çipilandin** *l/gh* **1.** budamak **2.** kırpmak **3.** çırpmak
**çipilandî** *rd* **1.** budanmış olan **2.** kırpılmış **3.** çırpılmış
**çipilîn** *m* **1.** budanma **2.** kırpılma **3.** çırpılma
**çipilîn** *l/ngh* **1.** budanmak **2.** kırpılmak **3.** çırpılmak
**çipizk** *n* iki parmakla, fiskeleyerek atılabilen taş
**çipînî** *m* şıpırtı, pıtırtı (su damlasının çıkardığı ses için) ~ **jê anîn** pıtırdatmak ~ **jê çûn** pıtırdamak
**çipîsk (I)** *m* damla
**çipîsk (II)** *m* fiske (parmaklardan birinin ucunu baş parmağın başına iliştirip birdenbire ileriye fırlatarak yapılan vuruş) ~ **lê dan** (an jî **xistin**) fiskelemek, fiske vurmak
**çiprîsk** *m* fiske
**çiptazî** *rd* çırılçıplak
**çiptazîtî** *m* çırılçıplaklık
**çipuryan** *rd* çırılçıplak
**çipuryanî** *m* çırılçıplaklık
**çiq (I)** *n* bacak
**çiq (II)** *n* **1.** dal * **çiqê darê** ağaç dalı **2.** budak **3.** çatal * **darekî du çiq** iki çatallı ağaç **4.** dal, şube ~ **kirin** dalları kesmek
**çiqal** *n* dal
**çiqandin** *m* budama
**çiqandin** *l/gh* budamak
**çi qas** *rd/h* **1.** kaç, ne kadar **2.** *d* kadar, denli * **hûn çi qas bilî bibin jî tewş e** ne denli uğraşsanız boştur ~ **hebe** olsun olsun ~ **hebe** en aşağı, ferah ferah * **çi qas çi qas hebe sî salî ye** ferah ferah otüz yaşında ~ **kevirek hebû me pişta xwe dayê, ser me de hat xwarê** neye el attıysak elimizde kaldı
**çi qasê** *c/n* kaçı * **çi qasê wê yên te ne?** bunların kaçı sana ait?
**çiqçiko** *zo/m* karagöz serçe
**çiqçiqan** **1.** kızışma **2.** çıtırdama
**çiqçiqandin** *m* **1.** kızıştırma **2.** çıtırdatma
**çiqçiqandin** *l/gh* **1.** kızıştırmak **2.** çıtırdatmak
**çiqçiqîn** *m* **1.** kızışma **2.** çıtırdama (odunun ateşte çıtırdaması gibi)
**çiqçiqîn** *l/ngh* **1.** kızışmak **2.** çıtırdamak (odunun ateşte çıtırdaması gibi)
**çiqdirêj** *rd* uzun bacaklı
**çiqereş** *zo/m* karga
**çiqê** *b* cik (çocuk dilinde)
**çiqil** *n* **1.** dal (ağacın gövdesinden ayrılan kollardan her biri) * **du çiqilên darê, ji ber bayê şikestibûn** ağacın iki dalı rüzgârdan dolayı kırılmıştı **2.** dalcık, ince dal, (küçük dal) **3.** salkımcık **4.** kol (akarsu, dere, nehir vb. nin kolları) **5.** branş ~ **di binî de tewîn** dalları basmak (ağaçta dalları eğecek kadar meyve olmak) **6.** *mec* uzantı * **çiqilê wê yê siyasî** onun siyasi uzantısı ~ **û gulî** (an jî **şax) dan** dal budak salmak * **merivatiya wan çiqil û gulî dabû** akrabalıkları dal budak salmıştı
**çiqilçem** *n* nehir kolu
**çiqildan** *m* dallanma, dal verme
**çiqil dan** *l/gh* dallanmak, dal vermek
**çiqildar** *rd* dallı
**çiqildayîn** *m* dallanış
**çiqilik** *m* dalcık
**çiqilk** *n* **1.** dal, ağaç dalı **2.** budak (ağacın dal olacak sürgünü) **3.** çitınik (üzüm salkımının küçük dalı) **4.** çatal (dallı olan şeylerin her biri) ~**ê darê çêbûn** budaklanmak ~**ê teze** budak özü
**çiqilokî** *rd* dalsı
**çiqil pê dan** *l/wb* dallandırmak
**çiqin** *m* kabız olma hali
**çiqinî** *rd* kabız
**çiqinîbûn** *m* kabız olma
**çiqinî bûn** *l/ngh* kabız olmak
**çiqinîtî** *m* kabızlık
**çiqirandin** *m* buruşturma, büzdürme
**çiqirandin** *l/ngh* buruşturmak, büzdürmek
**çiqirîn** *m* buruşma, büzülme
**çiqirîn** *l/ngh* buruşmak, büzülmek
**çiqîn** *m* ses seda
**çiqînî** *m* ses seda
**çiqkirin** *m* dalları kesme
**çiq kirin** *l/gh* dalları kesmek

**çiqlan** *m* nispet
**çiqlanî** *m* nispet etme
**çiqlanîkirin** *m* nispet etme
**çiqlanî kirin** *l/gh* nispet etmek
**çiqlik** *n* **1.** dalcık **2.** çitmik (üzüm salkımının küçük dalı)
**çiqlî** *n* **1.** dal **2.** budak (ağacın dal olacak sürgünü)
**çiqul** *n* dal, dalcık (ağacın gödesinden ayrılan kollardan her biri)
**çiqulî** *n* çatal ağaç
**çiqul kirin** *l/gh* budamak
**çiqûl** *bnr* çiqul
**çir (I)** *m* (*r* kalın okunur) yakan top oyununa benzeyen, topsuz ve karşılıklı iki grup tarafında oynanan geleneksel bir Kürt oyunu **~a (yekî) birin** yenmek, mağlup etmek * **min çira te bir** seni yendim
**çir (II)** *m* (*r* kalın okunur) **1.** yudum **2.** damla, damlacık (terleme sonucu oluşan damlacık) **~a şîr** kaymak gibi (bembeyaz)
**çir (III)** *rd* (*r* kalın okunur) **1.** sert, direngen **2.** sert, elastik (pişirildiği halde sert kalan yiyecek; et, taze fasulye, biber gibi) * **ev goşt çir e** bu et hala sert * **nanê çir** elastik gibi ekmek **3.** gergin * **rûyê min çir bûye sabûn a wî ne baş e** yüzüm gergin olmuş, sabunu iyi değil **4.** yoğun
**çir (IV)** (yumuşak *ç* ile) **1.** akibet, sonun gelmesi, ölüm haberi * **çirî hatî** ölüm haberi gelesi * **çirê re** sonunda **2.** bir işin tam zamanı * **çira masî** balık zamanı
**çir (V)** *m* çağlayan, çağlar
**çir (VI)** *m* tav (ağaç, tahta vb. şeyler için)
**çir (VII)** *m* akın etme, saldırma **~î (...) kirin** -e akın etmek * **ajalan çirî avê kirin** hayvanlar suya akın etti
**çir (VIII)** *c/m* ne * **çir dikî** ne yapıyorsun?
**çira (I)** *h* neden, niçin, niye * **te çira ev kir?** bunu neden yaptın? **~ xizan î, ji nezanî** yoksulluk bilgisizliktendir
**çira (II)** *m* **1.** çıra (ışık aracı) **2.** çıra (çam gibi reçineli ağaçların yağlı ve çabuk yanmaya elverişli bölümü) **~ hilkirin** çıra yakmak **~ pê xistin** çıra yakmak **~ya bêdon naîse** kazan kaynamayan yerde maymun oynamaz, aç ayı oynamaz **~ya bêdonî nade ronî** aç ayı oynamaz **~ya kesî heta serê sibehê naşewite** kimsenin ışığı sonsuza dek parlamaz **~ya (yekî) temirandin** ocağını söndürmek **~ya (yekî) temirîn** ocağı sönmek
**çira (III)** *nd/nt* oyunbaz
**çiraçep** *m* viraj, dönemeç
**çiradank** *m* çıralık, çırakma, çırakman
**çirahilkirin** *m* çıra yakma
**çira hilkirin** *l/gh* çıra yakmak
**çirakandin** *m* çıtırdama
**çirakandin** *l/gh* çıtırdamak
**çirakandî** *rd* çıtırdamış
**çirakîn** *m* çıtırdanma
**çirakîn** *l/ngh* çıtırdanmak
**çiran** *m* yırtılış, yırtılma
**çirandin (I)** *m* **1.** yırtma, yırtış **2.** yırtma (vücudu kanatacak kadar derin çizme) **3.** yırtma (zorlama)
**çirandin (II)** *m* gıcırdatma
**çirandin (I)** *l/gh* **1.** yırtmak * **tiştekî sirt devdelinga min çirand** sert bir şey paçamı yırttı **2.** yırtmak (vücudu kanatacak kadar derin çizmek) * **pisîkê destê zarok çirand** kedi çocuğun ellini yırttı **3.** yırtmak (zorlamak) * **hingî min gazî kir min qirika xwe çirand** bağıra bağıra gırtlağımı yırttım
**çirandin (II)** *l/gh* gıcırdatmak
**çirandî** *rd* yırtık, yirik
**çirandîbûn** *m* yırtıklık
**çiranek** *m* çörten, oluk (yapılardaki oluk için) * **weka ~ê hatin xwarê** oluk gibi akmak
**çiranekî** *rd* oluklu (üstünde yol yol oluklar bulunan) * **muqaweyê çiranekî** oluklu mukava
**çiranekîbûn** *m* oluklaşma
**çiranekî bûn** *l/ngh* oluklaşmak
**çiranok** *m* çörten, oluk
**çirapif** *m* mum söndü
**çiraq** *m* yudum, az miktarda su
**çiratî** *m* oyunbazlık
**çirav (I)** *m* **1.** kirli, çamurlu su **2.** balçık, cıvık çamur **3.** bataklık
**çirav (II)** *m* (*r* kalın okunur) **1.** çok ince ve az akan su **2.** çağlayan, çavlan
**çiravk** *m* su sızıntısı
**çirax (I)** *m* **1.** çıra, meşale, fener **2.** çıra (çam gibi reçineli ağaçların yağlı ve çabuk yanmaya elverişli bölümü)
**çirax (II)** *nd/nt* **1.** çırak (zanaat öğrenmek için bir ustanın yanında çalışan kimse) **2.** çırak (dükkanda ayak işlerine bakan kimse) * **çiraxê beqal** bakkal çırağı **~ê şêx** senede bir şeyhine sığır götüren kimse
**çiraxane** *m* çıraklık (çırakların yetiştiği yer)
**çiraxbûn** *m* çıraklaşma
**çirax bûn** *l/ngh* çıraklaşmak
**çiraxdar** *rd* **1.** çıralı **2.** çıralı, meşaleli, fenerli
**çiraxfiroş** *nd/nt* fenerci (fener satan kimse)
**çiraxfiroşî** *m* fenercilik
**çiraxî** *m* **1.** çıraklık (çırak olma durumu) **2.** çıraklık (çırağın yaptığı iş) **3.** çıraklık (çırağa verilen ücret)
**çiraxî kirin** *l/gh* çıraklık etmek
**çiraxker** *nd/nt* fenerci
**çiraxkerî** *m* fenercilik
**çiraxkirin** *m* **1.** becerme (üstesinden gelmek, güç görünen bir iş veya duruma çözüm bulma) **2.** eğitme, geliştirme
**çirax kirin** *l/gh* **1.** becermek (üstesinden gelmek, güç görünen bir iş veya duruma çözüm bulmak) **2.** eğitmek, geliştirmek
**çiraxvan** *nd/nt* fenerci (sokaklardaki fenerleri

için yanmak (ateş için) ~ **nîvî de man** yarıda kalmak ~ **oxura ... de** -e yoluna ~ **oxura dîn (ê îslamê) de** dini bir uğruna ~ **paceyê de berdiyê di kulekê de tê** kapıdan kovsan bacadan düşer ~ **paşila (yekî) de ketin xewê** koynunda uyumak ~ **paşila (yekî) de raketin** koynunda uyumak ~ **paşila (an jî paxila) xwe de kirin xewê** koynunda yatırmak ~ **paxila (yekî) de ketin xewê** koynunda uyumak ~ **pey (yekî) de bûn** sonradan olmak (doğmak) ~ **pey firehiyê de tengî ne** kul sıkılmayınca Hızır yetişmez ~ **pey tengahiyan de firehî** ~ **pey firehiyan de jî tengahî hene** her yokuşun bir inişi her inişin bir yokuşu vardır **(yek)** ~ **pêsîra xwe de kişandin** (birini) gömleğinden (veya gömlekten) geçirmek ~ **pêsîra xwe re kişandin** yakadan geçirmek ~ **pêsîrtengiyê de bûn** darda olmak, sıkıntıda olmak ~ **pêşa (yekî) de rûniştin** (birinin) kucağına oturmak * **kurik di pêşa xalê xwe de rûniştibû û nedixwest bê ba me** çocuk dayısının kucağına oturmuş, gelmek istemiyordu ~ **pişt caxên hesinî de** parmaklıklar ardında ~ **pişt deriyan de** parmaklıklar ardında ~ **pişt deriyên girtî de** kapalı kapılar ardında ~ **pişt guhê xwe re avêtin** yabana atmak * **tu nikarî van gotinên min di pişt guhê xwe re biavêjî** bu sözlerimi yabana atamazsın ~ **pişt guhê xwe re neavêtin** dikkate almak ~ **pişt perdeyê de** perde arkasında (veya arkasından) ~ **postê mihê de bûn** kuzu postuna bürünmüş kurt ~ **postê xwe de dewixîn** kendi yağımızda kavrulmak ~ **pozê (yekî) de derketin** burnundan gelmek ~ **pozê (yekî) de hatin** burnundan gelmek **(yek)** ~ **qaqa xwedê de birin** (birini) bıktırıp usandırmak ~ **qedera (yekî) de nivisandî bûn** alnında yazılmış olmak ~ **qedera (yekî) de reş nivisandî bûn** kaderi kötü yazılmış olmak ~ **qeweta (yekî) de hebûn** gücü yetmek (maddi olarak) **(tiştek)** ~ **qirika (yekî) de man** (bir şey) kursağında kalmak ~ **qirika (yekî) de neçûn (xwarê)** boğazından geçmemek ~ **qul û milan de lê gerîn** delik deşik aramak ~ **qul û qawêran de** kıyıda bucakta (veya kıyıda köşede) ~ **qulik milikan de** kıyıda bucakta (veya kıyıda köşede) ~ **qulik û bexşikan de** kıyıda bucakta (veya kıyıda köşede), kenarda köşede ~ **rengê (yekî) de kişf bûn** yüzünden akmak ~ **rengê (yekî) de xwîn tune bûn** benzinde kan kalmamak ~ **reşê (yekî) de kirin** kendilerine -e süsü vererek yapmak, başkalarının kılığında nahoş şeyler yapmak ~ **rê de man** yolda kalmak ~ **rêçika (yekî) de bûn** (birinin) izinde olmak ~ **rêwîtiyê de** yol boyu, yol süresince ~ **riya ... de** yoluna ~ **riya dîn (ê îslamê) de** dini bir uğruna ~ **riya (yekî) de canê (an jî serê) xwe dan** yoluna can vermek (veya yoluna canını vermek) ~ **riya xwe de bûn 1)** yolunda gitmek **2)** (bir yere) baş tutmak ~ **riya Xwedê de** Allah yolunda ~ **roja îro de** bu günkü günde ~ **rojên pêş de** yarın öbür gün ~ **rûyê (yekî) de derxistin** yüzünden okumak (yüzünden anlamak) ~ **rûyê (yekî) de dîtin (an jî nedîtin)** nazı geçmek (veya geçmemek) ~ **rûyê (yekî) de kifş bûn** yüzünden okumak (yüzünden anlamak) ~ **sayiyê de birûsk lê xistin** beklenmedik bir biçimde kazaya uğramak ~ **saya (..) de** (bu, şu, o) sayede ~ **ser çav de danîn (yekî)** gözünün ortasından vurmak, suratına indirmek ~ **ser çav de lê xistin** gözünün ortasından vurmak, suratına indirmek ~ **ser çavê (yekî) de bûn** birilerine yük olmak ~ **ser (yekê) de çavê xwe gerandin** (birinin) üstüne sevmek, (birinin) üstüne gül koklamak ~ **ser (yekê) de çavê xwe negerandin** (birinin) üstüne gül koklamamak ~ **ser de derbas bûn** üzerinden atlamak **(ew qas roj)** ~ **ser de derbas bûn** üstünden (şu kadar zaman) geçmek ~ **ser (yekê) de dil nehebandin** (birinin) üstüne gül koklamamak ~ **ser dilê (yekî) de bûn 1)** kucak kucağa olmak, tıkışık olmak, sıkışık bir durumda olmak * **em tev di odeyekê de di ser dilê wan de bûn** hepimiz bir odada kucak kucağaydık **2)** üstüne çullanmış olmak **3)** *argo* aşk yapar vaziyette olmak ~ **ser dilê hev de 1)** sıkışık bir şekilde **2)** alt alta ~ **ser guh re hatin avêtin** geçiştirilmek ~ **ser guhê xwe re avêtin** savsaklamak, baştan savmak **(wan)** ~ **ser hev re birin û anîn** terör estirmek, sindirmek ~ **ser hev re bûn 1)** birbirinden daha üstün olmak 2) fiyat olarak birbirinden farklı olmak, daha pahı olmak ~ **ser hev re çûn û hatin** alt üst olmak (rahatsızlanmak) ~ **ser hev re derbas kirin** 1) kasıp kavurmak * **du serseriyan taxa me di ser hev re derbas kirin** iki serseri mahallemizi kasıp kavurdu **2)** kasıp kavurmak (çok zarar vermek) * **vê bagera hanê her derê di ser hev re derbas kir** bu kasırga her tarafı kasıp kavurdu ~ **ser jina xwe de jin anîn** karısının üstüne evlenmek ~ **ser mehdê (yekî) xistin** iştahını açmak ~ **ser (...) re** aşkın * **di ser pênc hezarî re** beş bini aşkın ~ **ser re avêtin** (an jî **çûn**) taşmak ~ **ser re derbas bûn** atlamak (okuma, yazma, sayı sayma gibi işlerde bazı bölümleri bırakıp geçmek) ~ **ser re gongil kirin** baştan savma yapmak, asıl işi yapmamak. (te siyar birin peya hiştin) ~ **ser re ji (yekê) hez kirin** (birinin) üstüne sevmek ~ **ser (yekî) re kes tune bûn** üstüne (kimse) yok olmak ~ **ser gongil kirin** baştan savma yapmak, asıl işi yapmamak ~ **ser pozê (yekî) re mêr tune bûn** ondan daha yiğiti ol-

mamak ~ **ser pozê xwe re axa** (an jî **mêr) bûn** yiğit olmak ~ **ser pozê xwe re bi tu kesî qayîl nebûn** kimseyi beğenmemek, kibirli olmak ~ **ser pozê xwe re mêr nedîtin** kendine kimseye rakip görmemek ~ **ser re qevaz dan** (okuma, yazma, sayı sayma gibi işlerde bazı bölümleri bırakıp geçmek) * **gava ji yekê heta dehan dijimart, di ser pêncan re qevaz da** birden ona kadar sayarken beşin üstünden atladı ~ **ser re sekinîn** başına dikilmek (bir işi yaptırmak yanında ayakta durmak) ~ **ser re xeber dan** (an jî **axaftin**) yuvarlak konuşınak ~ **ser serî de qelaptin 1)** boy vermek (su insan boyunu aşacak kadar derin olmak) **2)** gırtlağına kadar ... olmak * **deynan di ser serî re qelabtiye** gırtlağına kadar borcu var **3)** baştan aşmak (pek çok olmak, pek çoğalmak) ~ **ser û berê (yekî) de kes tune bûn** karışanı erdeni olmamak ~ **ser û çav de danîn (yekî)** suratına indirmek ~ **ser (wî) û di ber (wî) re kes tune bûn** karışanı edeni olmamak, serbest olmak ~ **serê (yekî) de bi cih nebûn** kafasına sığmamak ~ **serê (yekî) de çûn 1)** akıla sığar gibi * **gotinên we di serê min de diçin** sözlerin akıla sığar gibi **2)** , inanmak * **ev vir bi serê yekî de naçe** bu yalanı kimse yutmaz ~ **serê (yekî) de ... heye** serde ... var ~ **serê (yekî) de neçûn** akıla sığmamak ~ **serê (yekî) de neniçilîn** akılına sığmamak ~ **serê (yekî) de niçilîn** akıla sığar gibi * **gotinên we di serê min de diniçilin** sözlerin akıla sığar gibi ~ **serê (yekî) de rûniştin** kafasına yatmak ~ **serê ser de rê lê birîn** (bir işi) başından kesmek * **di serê ser de rê li meseleya keçxwestinê birî** ben bu kız isteme olayını başından kestim min ~ **serê xwe de derbas kirin** kafasından geçirmek ~ **serê (hişê** an jî **qafê) xwe de girtin** kafasından tutmak ~ **serê xwe de sêwirandin 1)** içinden geçirmek **2)** hayalinden geçirmek **ser serî de avêtin** boy vermek (su insan boyunu aşacak kadar derin olmak) ~ **serî de girîngî dan (...)** planda tutmak * **di serî de girîngî dide dersên xwe** derslerini birinci plânda tutuyor ~ **serî de (...) bûn** başta gitmek (en iyeri durumda olmak) **(cihek, tiştek)** ~ **serî de hatin** başta gelmek * **di warê titûnê de Muş di serî de tê** tütüncülükte Muş başta gelir ~ **serî de peşk lê xistin** (bir işi) başından kesmek ~ **serî de pêşî lê birîn** (bir işi) başından kesmek ~ **serî de rê lê girtin** (bir işi) başından kesmek ~ **serî û dawî de** evvel ve ahir ~ **sinifê de hiştin** sınıfta bırakmak ~ **sinifê de man** sınıfta kalmak ~ **sî û stara (yekî) de çi hebe** elinde avucunda nesi varsa ~ **stûyê ... de be** ... boynuna * **guneh di stûyê gotinbêjan de be** günahı söyleyenlerin boynuna ~ **stûyê (yekî) de bûn 1)** boynuna kalmak **2)** boynuna ~ **stûyê (yekî) de cebirandin** (birinin) boynuna atmak ~ **stûyê (yekî) de man** (birinin) başına ekşimek, üstüne kalmak, (birinin) başına kalmak, boynunda kalmak **(karek)** ~ **stûyê (yekî) de man** (bir iş) üstüne kalmak ~ **stûyê (yekî) re hatin kirin** yamanmak (kötü bir şeye veya kimse birinin üstünde kalmak, yükletilmek) ~ **sûtiyê (yekî) re kirin 1)** (birine) kakalamak **2)** (birine) yamamak (istenmeyen kimse veya bir şeyi birine mal etmek) ~ **stûyê xweyê xwe de man** evde kalmak ~ **sûcê (yekî) borîn** suçunu bağışlamak, (birinin) suçundan geçmek ~ **sûretê tiştekî de xuya bûn** suretine girmek ~ **şên û şahiyan de** bayramda seyranda ~ **şîna (yekî) de xeniqîn** yasa boğulmak ~ **şûna ... de)** yerine * **di şûna min de tu here sînemayê** benim yerine sen sinemaya git **2)** yerinde * **di şûna bavê wê de ye** babası yerinde **3)** (birinin) namına **(yek)** ~ **şûna (...) de bûn** (bir şey) hükmünde olmak * **xezûr, di şûna bavê de ye** kaynata, baba hükmündedir ~ **şûna diya wî de ye** anası yerinde ~ **şûna stêrkan de xwîn barandin** kanlı yaş(lar) dökmek ~ **şûna stêrkê (yekî) de xwîn hatin** kan ağlaınak ~ **tariya** (an jî **tarîbana) sibehê de** sabahın alaca karanlığında ~ **tariyê de îşaret dan** karanlıkta göz kırpmak ~ **tatêlê de hiştin** merakta bırakmak ~ **tatêlê de man** merakta kalmak ~ **tayê hev de** dengi dengine ~ **tayê hev de bûn** denklik durumunda olmak ~ **tayê (wî) de lê vegerandin** dengiyle karşılamak ~ **tehtilê qîrê de be** canı cehenneme ~ **temaşeyê de bûn** seyre dalmak ~ **tenga** (an jî **hîza) hev de** aynı düzeyde ~ **tengasiyê de bûn** darda bulunmak ~ **teqereqê re çûn** gürültüye gitmek ~ **teqla xwe de sivik, di hêjana xwe de giran** yükte hafif pahada ağır ~ **tengasiyê de bûn** sıkıntıda olmak ~ **tengiyê de bûn** darda olmak **(bi yekî re)** ~ **texmîna min de** tahminime göre ~ **têkiliyê de bûn** (biriyle) temasta bulunmak ~ **tunebûniya (tiştekî) de** (birinin) yokluğunda ~ **tûrikê (yekî) de tiştek neman** dağarcıkta bir şey kalmamak ~ **van çendan de** bu günlerde, son günlerde ~ **van demê nû de** yenilerde, yakın geçmişte ~ **van demên dawî de** son zamanlarda ~ **van nêzan de** yakında, bu yakınlarda, yakınlarda * **hûn di van nêzan de hatin?** yakında mı geldiniz? ~ **van rojan de** bu günlerde, son günlerde ~ **van rojên nêzik de** bu yakın günlerde, şu günlerde ~ **vê (an jî vî) de tiştek heye** bunda bir iş var ~ **vê navê de** bu arada (veya bu meyanda) ~ **vî çendî de** bu yakınlarda ~ **vî nêzî de** bu yakınlarda ~ **wexta xwe de ye** saat gibi ~ **wextekî zû de** tez vakitte (veya zamanda) ~ **wê baweriyê** (an jî **qeneatê) de bûn** kanı-

sında olmak ~ **wê gavê de** dakikasında ~ **wê heynê de** derken, tam o esnada * **min nivîs dinivîsand, di wê heynê de mêvan hatin** yazı yazıyordu, derken misafir geldi ~ **wê navê (an jî saetê de)** gibi, o anda, tam o sırada ~ **wê rewşê de** ...hâlinde (görünümünde olarak) ~ **wê saetê de** o saat, dakikasında **(yek)** ~ **xap de girtin** (birini) gafil avlamak ~ **xizaniyê (an jî feqîriyê) de bûn** açlık çekmek ~ **xwarê re kaş kirin** yerde sürüklemek ~ **... xwe de (ye)** yaşında * **zarok di yeksaliya xwe de** ye çocuk bir yaşında ~ **xwe de bihartin** içine sindirmek, sineye çekmek ~ **xwe de derbas kirin 1)** içine sindirmek, sineye çekmek **2)** yutmak (dayanıp sesini çıkarmamak, katlanmak) * **ez van gotinên te di xwe de derbas nakim** ben bu sözlerini yutmam ~ **xwe de derbas nekirin** (aklına veya içine) sığdıramamak ~ **xwe de nebiha'rtin** (aklına veya içine) sığdıramamak ~ **xwe de qusikîn (şeqizîn** an jî **şermî bûn)** fena halde bozulmak, ters pers olmak ~ **xwe de şermî bûn** utancından çok sıkılmak, erimek ~ **xwe re nedîtin** erinmek ~ **xwêdanê de bûn av man** tere batmak **(yek)** ~ **xwêdanê de hiştin** (birini) kan ter içinde bırakmak ~ **xwêdanê de man 1)** ter içinde kalmak, kan ter içinde kalmak, ter basmak **2)** kan ter içinde kalmak, su içinde kalmak ~ **xwîna sor de gevizîn** al kanlara boyanmak ~ **xwînê de mewicîn** al kanlara boyanmak ~ **xwînê de sor bûn** kana boyanmak (veya bulanmak) ~ **zaroktiyê de qusiyaye** çekirdekten yetişme ~ **zik (ê) hev de 1)** iç içe * **qutiyên di zikê hev de** iç içe kutular **2)** toptan fiyat ~ **zinar de avêtin xwarê** yardan atmak (kazaya uğratmak)

**dia** *bnr* dua

**diakar** *bnr* duakar

**diaker** *bnr* duaker

**dialkol** *kîm/m* dialkol, glikol

**diapozîtîv** *m* diyapozitif, dia, slayt

**diarddan** *m* unlama

**di ard dan** *l/bw* unlamak

**di arvan dan** *l/bw* unlamak

**diaxwên** *nd/nt* dua okuyucu

**dibe** *rd* **1.** olur, olabilir **2.** *h* olur, peki

**dibe ku** *g* **1.** belki, belki de * **dibe ku kêmasiya vê yekê ji me be** belki de bu durumun kusuru bizde **2.** *h* ola ki **3.** *h* muhtemelen

**dibe nabe** *nd* **1.** olur olmaz * **êvar dibe nabe ez li wê me** akşam olur olmaz ordayım **2.** olur olmaz (doğru mu, yanlış mı, demeden) * **hema dibe nabe tu radikiyê tînî** olur olmaz demeden alıp getiriyorsun

**di ber çûn** *l/bw* önde gitmek

**diberdan** *m* **1.** dayanma (yetme) **2.** dayanma **3.** ısrar etme, diretme **4.** üsteleme, üstüne yüklenme, uğraşma

**di ber dan** *l/bw* **1.** dayanmak (yetmek) * **nan di ber zarokan nade** ekmek çocuklara dayanmıyor **2.** dayanmak * **sol di ber nadin** ona ayakkabı dayanmıyor **3.** ısrar etmek, diretmek * **pir di ber min da ku ez li wir bimînim** orada kalmam için çok ısrar etti **4.** üstelemek, üstüne yüklenmek, uğraşmak

**diberdayîn** *m* **1.** dayanma (yetme) **2.** dayanma **3.** ısrar etme, diretme **4.** üsteleme, üstüne yüklenme, uğraşma

**di ber de avêtin** *l/bw* **1.** sızdırmak, kaçırmak * **av di ber boriyê de diavêje bila haya te jê hebe** boru su kaçırıyor haberin olsun **2.** (birine) lâf dokundurmak, lâf atmak, iğneleyici konuşmak

**diberdeçûn** *m* sızdırma, kaçırma

**di ber de çûn** *l/bw* sızdırmak, kaçırmak

**di ber de man** *l/bw* **1.** takılı kalmak **2.** boğazında kalmak **3.** teklemek (tabanca bozulup tutukluk yapmak)

**di ber de neçûn** *l/bw* **1.** sızmamak **2.** boğazından geçmemek (yemek yiyememek) * **xwarin di ber min re naçe xwarê** yemek boğazımdan geçmiyor

**di ber de rêtin** *l/bw* dökülüp saçılmak (bir şey uğruna çok para harcamak)

**di ber dilê hev de** *h* kucak kucağa

**dibergerîn m** üstelenme

**di ber gerîn** *l/bw* üstelenmek

**diberhevdan** *m* **1.** çekişme, didişme (karşılıklı didişme, direnme) **2.** çarpışma (birbirine üstün gelmeye çalışma) **3.** al aşağı vur yukarı, al takke ver külah (çekişe çekişe pazarlık etme)

**di ber hev dan** *l/bw* **1.** çekişmek, didişmek (karşılıklı didişmek, direnmek) **2.** çarpışmak (birbirine üstün gelmeye çalışmak) * **ev her du raman li ber hev didin** bu iki düşünce çarpışıyor **3.** al aşağı vur yukarı, al takke ver külah (çekişe çekişe pazarlık etmek)

**di ber hev de** *rd* **1.** yan yana, sıkışık **2.** bir diğerinin yerine

**diberhevxistin** *m* yanyana koşturma

**di ber hev xistin** *l/bw* yanyana koşturmak

**di ber re avêtin** l/bw *l.* sızdırmak (su vb. için) **2.** ima etmek **3.** (birine) çaktırmadan lâf dokundurmak

**di ber re çûn** *l/bw* sızmak

**di ber re derbas bûn** *l/bw* yanından geçmek, uğramak

**di ber re gotin** *l/bw* sokuşturmak, sokmak (konuşma sırasında bir sözü, soruyu veya düşünceyi söyleyivermek)

**dibervebûn** *m* katlanma (bir şey içe doğru kıvrılma)

**di ber ve bûn** *l/bw* katlanmak (bir şey içe doğru kıvrılmak)

**dibervekirin** *m* **1.** çırpma, katlama (elbiseyi katlama) **2.** bastırma (bir kumaşın kenarları-

nı kıvırıp dikme) **3.** kıvırma (bir giysinin veya kumaşın kenarını bükerek ters dikme)
**di ber ve kirin** *l/bw* **1.** çırpmak, katlamak (elbiseyi katlamak) **2.** bastırmak (bir kumaşın kenarlarını kıvırıp dikmek) * **kenarê kinc di ber ve kiriye** elbisenin kenarını bastırmış **3.** kıvırmak (bir giysinin veya kumaşın kenarını bükerek ters dikmek)
**diberxwedan** *m* **1.** dayanına, direnme (tutunma, karşı durma) **2.** dayanma (zarar görmeme, varlığını koruma)
**di ber xwe dan** *l/bw* **1.** dayanmak, direnmek (tutunmak, karşı durmak) * **vî qumaşî pir di ber xwe da** bu kumaş çok dayandı **2.** dayanmak (zarar görmemek, varlığını korumak) * **ev keştî li ber firtûneyê dikare di ber xwe bide?** bu gemi fırtınaya dayanabilir mi?
**di ber xwe de gotin** *l/bw* kendi kendine söylenmek
**di ber zar de bûn** *l/bw* doğum yapmak (veya doğurmak) üzere olmak
**di ber zarok de bûn** *l/bw* doğurmak üzere olmak
**di ber zarû de bûn** *l/bw* doğurmak üzere olmak
**di ber zê de bûn** *l/bw* doğum yapmak (veya doğurmak) üzere olmak
**dibetiyî** *rd* **1.** belkili, olasılı **2.** fel belkili, olasılı
**dibetî** *rd* **1.** olası, muhtemel **2.** ihtimal, olasılık, olabilirlik **3.** fel olasılık
**dibeyatî** *fel/m* olasıcılık
**dibeyî** *rd* olasılık, olası
**dibê qey** *nd* sanki ~ **tu bavê bûkê yî naz** yapanlara, kendini büyük gösmeyeye çalışanlara denir
**dibêt** *m* fitil (koltuk ve sandalye gibi oturulan eşyanın yapımında dikiş veya çivileri gizlemekte kullanılan şerit)
**di bin çav de bûn** *l/bw* göz altında olmak
**di bin çavan de** *h* göz altında olarak, mahfuzen
**di bin de man** *l/bw* **1.** altında kalmak **2.** altta kalmak (yenilmek)
**di binî de** *h* **1.** sinsice **2.** gizli gizli, el altında, arkadan arkaya * **di binî de, di heqê me de tiştin digotin** arkadan arkaya hakkımızda bir şeyler söylüyordu
**di binî de bûn** *l/bw* sinsi olmak
**di binî re** *h* **1.** alttan alta **2.** kaçamak (belli etmeden, gizlice)
**di bin nezaretê de** *h* göz altında olarak, mahfuzen
**di bin re** *h* **1.** sinsice **2.** alttan alta, el altında, gizliden gizliye, gizli gizli
**di bin xwe re dîtin** *l/bw* (biri kendinden) küçük (veya hor) görmek
**dibistan** *m* **1.** okul **2.** okul (bir okuldaki öğrenci ve görevlilerin tümü) * **dibistan bela bû** okul dağıldı ~**a bijîşkî** tıp okulu ~**a destpêkî** ilk okul ~**a hundirî (an jî leylî)** yatılı okul ~**a hunerî** sanat okulu ~**a ji kîsê dewletê** parasız yatılı okul ~**a keçan** kız okulu ~**a leylî ya mecanî** parasız yatılı okul ~**a mulkiyeyê** mülkiye mektebi ~**a pîşekariyê** meslek okulu ~**a teknîkî** teknik okul ~**a têkelî** karma okul
**dibistana amadeyî** *nd* lise
**dibistana bilind** *nd* yüksek okul
**dibistana dambijîşkî** *nd* veterinerlik okulu
**dibistana destpêkî** *nd* ilk okul
**dibistana herbiyeyê** *nd* harp okulu
**dibistana navîn** *nd* orta okul
**dibistana navîtayî** *nd* orta okul
**dibistana pêşîn** *nd* ilk okul
**dibistana seretayî** *nd* ilk okul
**dibistana veterîneriyê** *nd* veterinerlik okulu
**dibistanceng** *nd* harbiye, harp okulu
**dibistanî** *rd* okullu
**dibistanvanî** *rd* okullu
**dibîranîn** *m* hatırlama, anma
**di bîr anîn** *l/bw* hatırlamak, anmak
**di bîra xwe anîn** *l/bw* anımsamak, hatırlamak
**dibûr** *erd/m* yamaçlarda bulunan küçük düz arazi
**dibûrî erd** *rd* **1.** güzey (az güneş alan, gülgeli kuzey yamaç) **2.** gün görmez, kuytu (güneş ışığı almayan yer)
**dibûrîbûn** *m* kuytuluk
**dibûş** *bnr* debûş
**di canê xwe bihurîn** *l/bw* **1.** canından vazgeçmek **2.** canına susamak
**di carekê de** *h* **1.** birden, bir defada **2.** bir hamlede, bir atılışta
**dicihde** *nd* yerinde oynanılan bir halay
**di cih de** *h* **1.** derhal **2.** *nd* yerinde, gereği gibi * **bersîveke di cih de** yerinde bir cevap
**di cih de bûn** *l/bw* **1.** yerinde olmak (yerinde iş görmüş olmak) **2.** durmak, satılmaz olmak * **malê me hê di cih de ye** malımız hâla duruyor **3.** kocaya varmamış olmak * **keçên wî hîna di cih de bûn** kızları hâla kocaya varmamışlardı
**di cih de sar bûn** *l/bw* olduğu yerde kalakalmak
**di cihê xwe de çikîn** *l/bw* kaskatı kesilmek
**di cihê xwe de ketin** *l/bw* külçe gibi olmak (yorgun ve bitkin bir durumda çöküvermek)
**di cihê xwe de sar bûn** *l/bw* şaşıp kalmak
**di cî da** *bnr* di cih de
**di çapana xwe de** *nd* kendi çapında, küçük çapta * **di çapana xwe de bazirganiyê dike** küçük çapta ticaret yapıyor
**di çamûrê dan** *l/bw* çamurlatmak
**di çêran de hiştin** *l/bw* kalaylamak (çok sövmek)
**didan** *n* **1.** diş * **didanên sipspî yên jinikê he-**

**bûn** kadının bembeyaz dişleri vardı **2.** diş (çark, testere, tarak gibi çentikli şeylerdeki çıkıntıların her biri) **3.** *zo* diş (omurgalı hayvanların çenelerinde veya ilkel yapılı omurgalıların gırtlak ve ağızlarında bulunan kemiksi sert parça) **~ê zir** takma diş
**didançîq** *bnr* dirançîq
**didandar** *rd* dişli (dişleri olan)
**didanfirk** *rd* ön dişleri aralıklı olan
**didangir** *rd* iri dişli
**didanhûr** *rd* ufak dişli
**didanî** *rz/rd* dişsel
**didankurmî** *rd* çürük dişli
**didanok** *n* dişcik, küçük diş
**didansaz** *bnr* diransaz
**didansazî** *bnr* diransazî
**didanşîrî** *n* süt dişi
**didantûj** *rd* sivri dişli
**didanzêr** *rd* altın dişli
**di dawiyê de** *h* sonunda, nihayet * **di dawiyê de te fehm kir** nihayet anladın
**di derbekê de** *h* **1.** bir seferde **2.** bir dikişte (su, içki vb. için) **3.** birden
**di dest de girtin** *l/bw* elinde yakalamak
**di destengiyê de bûn** *l/bw* darda olmak, sıkıtıda olmak, sıkışık olmak (maddi olarak)
**di destê xwe de girtin** *l/bw* avucunda tutmak, hepsini vermemek, elinde tutmak
**di dest re girtin** *l/bw* elinde yakalamak
**di dev de girtin** *l/bw* lâfı ağzına tıkamak
**di dev re kirin** *l/bw* **1.** ağzına tıkıştırmak **2.** *mec* yedirmek
**di dezgîn de** *h* anında, hemen
**di dilê xwe de** *h* kendi kendine
**di dil xwe de** *h* kendince, zanederek
**di emel de** *nd* pratikte
**di emrê xwe de** *nd* ömründe
**di erênayê de man** *l/bw* üç aşağı beş yukarı dolaşmak
**dif (I)** *m* belâ
**dif (II)** *nd* nezninde
**difin** *ant/n* burun **~ê xwe hildan** burun şişirmek
**difinberan** *rd* koç burunlu
**difinbilind** *rd/nt* kibirli
**difinbilindî** *m* kibirlilik **~ kirin** kibirlik yapmak
**difinmoç** *rd* kısa burunlu
**difing** *bnr* difin
**difinhildayî** *rd* kalkık burunlu
**difinî** *rz/rd* genizsel, genizsi
**difinîbûn** *rz/m* genizsileşme
**difinkêr** *rd* (r kalın okunur) kartal gagalı
**difinkêrî** *rd* kartal gagalıca
**difinkutilkî** *rd* köfte burunlu
**difinnarîn** *rd* narin burunlu
**difinnikul** *rd* gaga burunlu
**difinpelixî** *rd* basık burunlu
**difinqut** *rd* kısa burunlu
**difinşûjin** *rd* sivri burunlu
**difnik** *ant/n* burun
**difr** *bnr* difre
**difraksiyon** *fiz/m* difraksiyon
**difre** *m* **1.** caka, kurum, tafra **2.** şık, şık giyinen **~ kirin** tafra yapmak
**difs** *bnr* dims
**difterî** *bj/m* difteri
**digale** *m* ilkbaharda suyu olan çeşme
**digel** d/g **1.** ile * **digel min were** benimle gel **2.** ile beraber, birlikte, rağmen (-dığı/-diği anda) * **digel birayê xwe** kardeşiyle beraber **3.** ile beraber (-dan/-den başka) * **digel nivîsandina nameyê birûske jî hinart** mektup yazmakla beraber telgraf da çekti **4.** ile beraber (-dığı/,diği halde) * **digel ku bi salan xebitî dîsa bi ser neket** yıllarca çalışmakla beraber yine başaramadı **5.** *h* karşın, mukabil **~ bûn** yanında, beraberinde **~ her îhtimalê** ihtiyaten, her ihtimale karşı **~ hev** ile birlikte, ile beraber, bir arada **~ ku** *d* karşın, gine de **~ ku hate gotin** derken (dendiği halde) * **balafirgeha digel ku hate gotin dike biqede, lê hîna neqediyaye** bitti bitiyor derken, hâlâ bitmeyen havaalanı **~ vê** bununla birlikte (veya bununla beraber) **~ vê qasê** kaldı ki, ille velâkin, gel gelelim, bununla birlikte, -e rağmen **~ vê yekê** -e rağmen **~ wê** ilâveten **~ xwe** beraberinde, yanı sıra * **we kitêba min ligel xwe anî** kitabımı beraberinizde getirdiniz mi?
**digelhevî** *m* beraberlik (birlikte olma durumu)
**di gerewê de** *nd* karşılık olarak
**di gerewê de dan** *l/bw* **1.** karşılık olarak vermek **2.** rehin vermek
**di germê de** *h* sıcağı sıcağına, arası geçmeden
**di gewriyê de man** *l/bw* boğazında kalmak
**digirmî** *rd* etrafı, ölçüsü aynı
**di guhê gê de bûn** *l/bw* dünyayadan bihaber olmak
**di guhê xwe kirin** *l/bw* kafasına koymak
**di gurimtiyê de çûn** *l/bw* kim vurduya gitmek
**di halê xwe de girîn** *l/bw* içten içe ağlamak
**di hayê de çûn** *l/bw* berhava olmak, boşa gitmek
**dih (I)** *n* köy
**dih (II)** *m* yaprak veya ot yığını
**dihar** *m* **1.** doruk, zirve **2.** bir şeyin üstü
**dihaskan** *rd* loğusalı
**di hedê xwe de** *rd* uslu, akıllı
**di hembêza hev de** *h* kucak kucağa
**di hemla xwe de gerandin** *l/bw* karnında taşımak
**di heq** *d/h* hakkında **~ê (yekî)** de (bir kimsenin) hakkında * **hez dike di heqê vê ferhengê de bipeyîve** bu sözlük hakkında konuşmak istiyor
**di her halî de** *h* her halde
**di heriyê dan** *l/bw* çamurlatmak

**di heriyê de hesikandin** *l/bw* çamurlatmak
**dihevdan** *m* 1. sürtüştürme 2. ovuşturma
**di hev dan** *l/bw* 1. sürtüştürmek 2. ovuşturmak * **destên xwe di hev dan** ellerini ovuşturdu
**dihevdayîn** *m* 1. sürtüştürme 2. ovuşturma
**dihevde** *rd/h* 1. aralıksız, sık, sık sık (birbirine bitişik olan) * **me çîçek di ber hev de danîn** çiçekleri sık ekti 2. etli butlu, tıknaz 3. *h* sıkça 4. *rd* tok (sık ve kalın dokunmuş kumaş)
**di hev de barîn** *l/bw* çözülmek, yıkılmaya yüz tutmak * **kevir di hev de barîne** taşlar yıkılmaya yüz tutmuş
**di hev de bihartin** *l/bw* (birine) eziyet çektirmek
**di hev de bihartî** *rd* 1. zayıflanmış kimse 2. çok melül kimse 3. eziyet çekmiş olan
**di hev de bihurîn** *l/bw* 1. çok kilo verip zayıflamak 2. bir deri bir kemik kalmak
**di hev de bûn** *l/bw* 1. sıkı, berk olmak 2. etli butlu olmak 3. sık dokunmuş olmak 4. (ev) dağınık olmak, derli toplu olmamak * **mal tev di hev de ye** ev hep dağınık
**di hev de derbas bûn** *l/bw* 1. kilitlenmek (karşılıklı çıkıntıları olan şeyleri birbirine geçmek) 2. sinmiş olmak, baskı görmüş olmak
**di hev de derbas kirin** *l/bw* 1. kilitlemek (karşılıklı çıkıntıları olan şeyleri birbirine geçirmek) 2. sindirmek, baskı uygulamak
**di hev de derketin** *l/bw* 1. (birbirine) rast gelmek, rastlaşmak 2. karşı karşıya gelmek (birden karşılaşmak)
**di hev de hiştin** *l/bw* 1. bir şeyi olduğu gibi bırakmak 2. sorunu konuşmamak (veya sorunu çözüme kavuşturmamak)
**di hev de qul bûn** *l/bw* birbirinin açığını bilmek (birbirine gebe olmak)
**di hev derketin** *l/bw* 1. rastlaşmak 2. karşı karşıya gelmek
**di hev de sekinîn** *l/bw* konuşamaz olmak, donup kalmak (şaşkınlıktan)
**di hev de tewîn** *l/bw* büklüm büklüm olmak
**di hev hekandin** *l/bw* sürtüştürmek
**di hev hekîn** *l/bw* sürtüşmek
**di hevîr gerîn** *l/bw* hamurlanmak
**di hev mesihandin** *l/bw* sürtüştürmek
**dihevniyan** *m* düzüşme, sikişme
**di hev niyan** *l/bw* düzüşmek, sikişmek
**di hev re derbas kirin** *l/bw* çaprazlamak * **destê xwe li ser singê xwe di hev re derbas kiribû û** ... ellerini göğsünün üstünde çaprazlayarak ...
**di hev werkirin** *l/bw* (birbirine bir şeyler) fırlatmak
**di hev xerxitandin** *l/bw* sürtüştürmek
**di heyamê de** *h* zamanında
**di heyna... de** *d* fi tarihinde
**di hêsan dan** *l/bw* kılağılamak
**dihin** (I) *m* önem dan
önem vermek
**dihin** (II) *m* dahın (araba çalışırken çıkardığı ses, çocuk dilinde)
**dihindan** *m* önem verme
**dihindihin** *m* araba (çocuk dilinde)
**di hiş de man** *l/bw* akılda kalmak
**di hişê xwe de bi cih kirin** *l/bw* (bir şeyi) zihnine yerleştirmek
**di hişê xwe de girtin** *l/bw* aklında tutmak, hatırında tutmak
**dihî** *rd* köylü
**dihm** *rd* 1. çorak (verimli olmayan toprak) 2. kurak (yağışsız)
**dihmbûn** *m* çoraklaşma
**dihm bûn** *l/ngh* çoraklaşmak
**dihmî** *m* çoraklık
**dihm kirin** *l/gh* çoraklaştırmak
**dihmkirin** *m* çoraklaştırma
**dihol** *bnr* dahol
**dihr** *bnr* dihar
**dij** *nd* 1. karşı (bulunan yere göre önde, ileride olan) 2. *rd* karşıt, zıt * **partiya hember** karşıt parti 3. aykırı, tersi **~î hev** taban tabana zıt **~î rastiyê** gerçeğe aykırı
**dijahî** *bnr* dijayî
**dijatî** *m* 1. muhalefet (karşı görüşte, tutumda olan kimseler topluluğu) 2. karşıtlık, tezat 3. çelişki 4. aykırılık ~ **kirin** muhalefet etmek
**dijayetî** *bnr* dijatî
**dijayî** *m* karşıtlık
**dijbalafir** *m* uçaksavar
**dijber** *nd/nt* 1. karşıt, muhalif 2. aleyhtar 3. karşıt, zıt
**dijberbûn** *m* 1. karşı olma 2. karşıt olma
**dijber bûn** *l/ngh* 1. karşı olmak 2. karşıt olmak
**dijberî** *m* 1. karşıtlık, muhaliflik 2. aleyhtarlık 3. zıtlık, karşıtlık 4. aykırılık ~ kirin muhalefet etmek **~ya wateyî** *rz* anlam aykırılığı
**dijberî hev bûn** *l/bw* ters düşmek
**dijbersîv** *m* karşı cevab
**dijbirûsk** *m* yıldırımsavar
**dijcivakî** *rd* toplum dışı
**dijcuhî** *rd/nd* antisemitik
**dijcuhîtî** *m* antisemitizm
**dijdar** *rd* karşıtlı
**dijdarî** *psî/m* karşıt duygu, antipati
**dijdarîtî** *m* karşıtlık, tezat
**dijdemokratîk** *rd* antidemokratik
**dijdoz** *m* karşı dava
**dijdozîne** *man/m* karşı sav
**dijejehr** *m* panzehir
**dijende** *rd* karşıt, mukabil
**dijezehr** *m* panzehir
**dijêrîş** *m* 1. karşı saldırı, kontratak 2. sp karşı akın (veya atak)
**dijgenî** *rd/nd* antiseptik
**dijhander** *rd* karşı özendirici
**dijhevî** *biy/m* 1. karşı gelim 2. *biy* karşıtlık
**dijîmze** *m* karşı imza
**dijîtal** *rd* dijital

**dijîtî** *m* 1. karşıtlık, muhalefet 2. zıtlık 3. aykırılık
**dijkarî** *m* karşı iş
**dijlêdan** *m* karşı vuruş
**dijmane** *rd* karşıt anlamlı
**dijmend** *rd* karşıtlı
**dijmin** *nd/nt* 1. düşman, hasım (birinin kötülüğünü isteyen, ondan nefret eden, ona zarar vermek isteyen) * **bi çavên dijminan li min mêze dike** bana düşınan gözlerle bakıyor 2. düşman (birbiriyle savaşan devletler ve bu devletlerin asker, sivil bütün uyrukları) 3. düşman (aralarında çatışmaya varacak ölçüde anlaşmazlık bulunan taraflardan her biri) 4. düşman (bir şeyin yaşamasına, barınmasına engel olan; güç, tutum vb.) 5. mec düşman (bir şeyi büyük ölçüde kullanıp tüketen) * **dijminê nan** ekmek düşmanı 6. *mec* düşman (bazı şeylerden nefret eden, tiksinen kimse) * *dijminê araqê* alkol düşmanı ~ **behicandin** düşman çatlatmak ~ **ji hev re nabin** dost düşman düşmana gazel (veya yasin) okumaz ~**ê bavan nabin dostê lawan** düşmandan dost olmaz ~**ê ji dil û can** can düşmanı ~**ê mirov yek jê ziman e yek jî jin e** insanın baş belâsından biri dili diğeri de kadınıdır ~**ê te gêrik be jî dîsa hesabê xwe bike** düşmanından sakınmak lazım
**dijminahî** *bnr* dijminatî
**dijminane** *rd/h* düşmanca, hasımane
**dijminatî** *m* 1. düşmanlık, hasımlık, husumet (düşman olma durumu) 2. düşmanlık (düşmanca duygu veya davranış) ~ **kirin** düşmanlık beslemek, husumet beslemek ~**î pê re kirin** (birine) düşmanlık beslemek
**dijminayî** *bnr* dijminatî
**dijmindar** *rd* düşmanlı, düşman sahibi
**dijmindarî** *m* düşmanlılık, düşman sahibi olma durumu
**dijminî** *m* 1. düşmanlık (düşman olma durumu) 2. düşmanlık (düşmanca duygu veya davranış) ~**î pê re kirin** (birine) düşmanlık beslemek ~**ya (yekî)** kirin düşman kesilmek
**dijminkarî** *m* düşmanlık
**dijminkî** *rd/h* düşmanca
**dijminparêz** *nd/nt* düşmanı savunan, onun saflarında yer alan
**dijminparêzî** *m* düşmanı savunma, onun saflarında yer alama
**dijmintayî** *m* düşmanlık
**dijmintî** *m* 1. düşmanlık (düşman olma durumu) 2. düşmanlık (düşmanca duygu veya davranış)
**dijminwarî** rd/h düşmanca
**dijmirov** *rd* insanlık dışı
**dijmirovane** *h* insanlık dışı bir biçimde
**dijmirovî** *m* insan dışılık
**dijmîn** *m* sövgü, küfür ~ **hatin rûyê (yekî)** küfür yemek ~ **pê hatin kirin** sövülmek
**dijmîndan** *m* sövme, küfretme
**dijmîn dan** *l/gh* sövmek, küfretmek
**dijmîndayîn** *m* sövüş
**dijmînîhevdan** *m* sövüşme
**dijmînî hev dan** *l/bw* sövüşmek
**dijn** *nd* -den gayri, -den hariç
**dijpêşniyaz** *m* karşı öneri
**dijqerisîn** *m* antifriz
**dijraber** *nd/nt* 1. karşıt, muhalif 2. *rd* zıt, karşıt 3. karşıtçı, aleyhtar 4. *rd* aykırı ~**ê cengê** (an jî **şer**) savaş karşıtı ~**î (tiştekî)** aksine
**dijraberbûn** *m* 1. karşıtlaşma, muhalifleşme 2. kırılaşma
**dijraber bûn** *l/ngh* 1. karşıtlaşmak, muhalifleşmek 2. kırılaşmak
**dijraberî** *m* 1. karşıtlık, muhaliflik 2. karşıtlık, tezat 3. karşıtçılık 4. aykırılık
**dijraberîkirin** *m* karşıtlama
**dijraberî kirin** *l/gh* karşıtlamak
**dijrabertî** *bnr* dijraberî
**dijrawestan** *m* karşı duruş
**dijrewtek** *m* karşı akım (veya cereyan)
**dijrêzik** *rd* kural dışı
**dijrêzikî** *m* kural dışılık
**dijsaloxgerî** *m* karşı istihbarat
**dijsamî** *rd/nd* antisemit
**dijsamîtî** *m* antisemitizm
**dijseng** *m* karşı denge, eş ağırlık
**dijsîxur** *nd/nt* karşı casus
**dijsîxurî** *m* karşı casusluk
**dijşoreş** *m* karşı devrim
**dijşoreşger** *nd/nt* karşı devrimci
**dijşoreşgerî** *m* karşı devrimcilik
**dijtank** *m* tanksavar, antitank
**dijtoreyî** fel/rd töre dışı
**dijtoreyîtî** fel/m töre dışıcılık
**dijûn (I)** *rd* çok kirli, pasaklı
**dijûn (II)** *m* sövgü, küfür ~ **hatin rûyê (yekî)** küfür yemek ~ **pê hatin kirin** sövülmek **(yek) di ~an de** ricimandin kalayı basmak
**dijûndan** *m* sövme, küfretme
**dijûn dan** *l/gh* sövmek, küfretmek
**dijûnî** *m* evlenme isteği, çocuk yapma isteği * **ev jinik dijûniyan** dike bu kadın çocuk yapmak istiyor
**dijûnîhevkirin** *m* sövüşme
**dijûnî hev kirin** *l/bw* sövüşmek
**dijûnker** nd/rd sövgücü, küfürbaz
**dijûnkerî** *nd/nt* sövgücülük, küfürbazlık
**dijûnkirin** *m* sövme, sövüş, küfretme
**dijûn kirin** *l/gh* sövmek, küfretmek
**dijwar** *rd* 1. zorlu, zor, zahmet, güç, müşkül (güç yapılan, ağır ve yorucu emekle yapılan) * **em di qonaxên gelek dijwar de bihurîn** çok zorlu safhalardan geçtik * **hînbûna nivîsa kevn karekî dijwar e** eski yazıyı öğrenmek güç bir iş 2. güç, çetin, zahmetli (yapılması zor, çetin) 3. zahmetli (sıkıntı veren) * **riyên dijwar** zahmetli yollar 4. çetre-

fil (yapı ve ses kurallarına aykırı kullanılan dil) **5.** azgın, hırçın * **seyê dijwar** azgın köpek **6.** azgın (ten için, çabuk iltihaplanan, yarası hemen kapanmayan) * **birîna dijwar** azgın yara **7.** keskin (etkili, sert) * **bayekî dijwar î karîger digobile** keskin ve etkileyici bir rüzgâr esiyor **8.** keskin (görevini iyi yapan) * **nîşangêrekî dijwar** keskin nişancı **9.** yaman * **nakokiyeke dijwar** yaman çelişki **10.** çetin, yüklü * **vê carê bernameya me dijwar e** programınız bu sefer çok çetin (ya da yüklü) **11.** acar (atılgan, yılmaz) * **seyê dijwar** acar köpek **12.** çekişmeli * **maçeke dijwar** çekişmeli bir maç **12.** çileli, zahmet * **karekî dijwar** çileli bir iş **13.** kızıl (aşırı derecede olan) * **di nava wan de qewxeyeke dijwar dest pê kiribû** aralarında kızıl bir kavga başlamıştı **14.** kuvvetli, (inandırıc, çok etkileyici) * **intên dijwar** kuvvetli inatlar **15.** sert (çarpıcı niteliği olan, keskin) * **titûna dijwar** sert tütün **16.** amansız

**dijwarane** rd/h **1.** zorluca, zorca, zahmetlice, çetince **2.** çetrefilce **3.** azgınca, hırçınca **4.** keskince **5.** acarca **6.** çekişmelice **7.** çilelice **8.** sertçe **9.** amansızca

**dijwarbûn** *m* **1.** zorlaşma, çetinleşme, güçleşme, yeğinleşme **2.** çetrefilleşme **3.** azma (yara, hastalık vb. için; etkili, tehlikeli duruma gelme) **4.** azgınlaşma **5.** keskinleşme (etkili olma, sert olma) **6.** fenalaşma (kötü bir duruma girme) **7.** kızışma (zorlu, sert ve kızışık bir durum alma, şidetlenme) **8.** sertleşme (tütün gibi) **9.** acarlaşma

**dijwar bûn** *m* **1.** zorlaşmak, çetinleşmek, güçleşmek, yeğinleşmek zorlaşmak * **xwe debarkirin her diçe zor dibe** geçinmek gittikçe zorlaşıyor **2.** çetrefilleşmek (dil için) **3.** azmak (yara, hastalık vb. için; etkili, tehlikeli duruma gelmek) **4.** azgınlaşmak **5.** keskinleşmek (etkili olmak, sert olmak) **6.** fenalaşmak (kötü bir duruma girmek) **7.** kızışmak (zorlu, sert ve kızışık bir durum almak, şidetlenmek) **8.** sertleşmek (tütün gibi) **9.** acarlaşmak

**dijwarbûnî** *m* **1.** zorluk, güçlük **2.** azgınlık, hırçınlık **3.** keskinlik **4.** acarlık

**dijwarbûyîn** *m* **1.** zorlaşma, çetinleşme, güçleşme, yeğinleşme **2.** çetrefilleşme **3.** azma (yara, hastalık vb. için; etkili, tehlikeli duruma gelme) **4.** azgınlaşma **5.** keskinleşme (etkili olma, sert olma) **6.** fenalaşma (kötü bir duruma girme) **7.** kızışma (zorlu, sert ve kızışık bir durum alma, şidetlenme) 8. sertleşme (tütün gibi) 9. acarlaşma

**dijwardîtin** *m* güçsünme

**dijwar dîtin** *l/gh* güçsünmek

**dijwarî** *m* **1.** zorluk, güçlük, çetinlik, zahmet * **dijwariya vî karî nîn e** bu işin zorluğu yok **2.** meşakkat, müşkülât, güçlük **3.** azgınlık, hırçınlık **4.** keskinlik (etkililik, sertlik) **5.** acarlık (atılganlık, yılmazlık) **6.** sertlik (çarpıcı niteliği olma, keskinlik) ***dijwarbûna titûnê ez aciz kirim*** tütünün sertliği beni rahatsız etti **7.** amansızlık ~ **derxistin** güçlük çıkarmak, zorluk çıkarmak ~ **jê re çêkirin** (birine) müşkülât çıkarmak ~ **kişandin** güçlük çekmek, meşakkat çekmek

**dijwarkirin** *m* **1.** zorlaştırma, güçleştirme, çetinleştirme **2.** çatallaştırma **3.** azdırma **4.** keskinleştirme (etkili kılma) **5.** kızıştırma (zorlu, sert ve kızışık bir duruma getirme, şidetlendirme)

**dijwar kirin** *l/gh* **1.** zorlaştırmak, güçleştirmek, çetinleştirmek **2.** çatallaştırmak **3.** azdırmak * **melhemê birîn dijwar kir** merhem yarayı azdırdı **4.** keskinleştirmek **5.** kızıştırmak (zorlu, sert ve kızışık bir duruma getirmek, şidetlendirmek)

**dijwarkirî** *rd* **1.** zorlaştırılmış, güçleştirilmiş, çetinleştirilmiş **2.** çatallaştırılmış **3.** azdırılmış **4.** keskinleştirilmiş **5.** kızıştırılmış

**dijwarkî** *rd/h* zorca, çetince

**dijwartirbûn** *m* güçleşme, çatallaşma, vahamet kesp etme

**dijwartir bûn** *l/ngh* güçleşmek, çatallaşmak, vahamet kesp etmek * **kar dijwartir bû** iş çatallaştı

**dijwartirkirin** *m* **1.** güçleştirme **2.** fenalaştırma

**dijwartir kirin** *l/gh* **1.** güçleştirmek **2.** fenalaştırmak

**dijwartî** *m* **1.** zorluk, güçlük **2.** azgınlık **3.** keskinlik

**dijwate** *rd* karşıt anlamlı, zıt anlamlı * **peyvên dijwate** karşıt anlamlı kelimeler

**dik** *m* **1.** sofa, gezinti **2.** sahne **3.** plâtform (yüksekçe yer)

**dikak** *m* erzak, buğday

**dikakfiroş** *nd/nt* buğdaycı (satıcısı)

**dikan** *m* **1.** dükkan **2.** dükkan (çalışılan yer)

**dikana berberiyê** *nd* berber dükkanı

**dikana pirtûkfiroşiyê** *nd* kitap evi

**dikandar** *nd/rd* dükkancı

**dikandarî** *m* dükkancılık

**di karîgeriyê de bûn** *l/bw* yürürlükte bulunmak (veya olmak)

**di karîgeriyê de man** *l/bw* yürürlükte kalmak

**di karvaniyê de** *nd* pratikte

**di ker de** *h* **1.** gizliden gizliye, çaktırmadan, sessizce, sesizcene, kulak kulağa * **di ker de axiftin** kulak kulağa konuştular **2.** kaçamak (belli etmeden, gizlice) ~ **jê re gotin** kulağına söylemek ~ **xeber dan (yekî)** fıslamak

**di kere de** *h* yaşın yaşın, suskun (sesiz bir biçimde)

**di kerê xwe niyan** *l/bw* argo çok bozulmak, göt üstü oturmak

**dikilandin** minet etmek
**dikilandin** *l/gh* minnet etmek
**dikildar** *rd* minnettar
**dikildarî** *m* minnettarlık
**dikilîş** *m* minnet
**dikirandin** *m* **1.** anarak bahsetme, bahsetme, sözetme **2.** söz konusu etme **3.** tekrarlama
**dikirandin** *l/gh* **1.** anarak bahsetmek, bahsetmek, sözetmek **2.** söz konusu etmek **3.** tekrarlamak
**di kirasê berê de bûn** *l/bw* eski tas eski hamam olmak
**di kirê de bûn** *l/bw* kirada olmak (veya oturmak)
**di kun re çûn** *l/bw* içe göçmek
**dikunreçûyî** *rd* sokur (içeriye batmış) * **çavê dikunreçûyî** sokur göz
**di kûr de çûn** *l/bw* **1.** derinden gitmek, batmak **2.** detaylarına girmek
**dikxatûn** *jeo/nd* peri masası
**dil** *ant/n* **1.** yürek, kalp **2.** yürek, kalp (kalp hastalığı) * **ji ber sekteya dil mir** kalbten öldü **3.** yürek, gönül (bir kimsenin ruhsal yönü) * **destê wê dilerizî, dilê wê dişewitî** elleri titriyor yüreği yanıyordu **4.** *mec* kalp, gönül (sevgi, istek, düşünüş, anma ve hatır gibi kalpte var olduğu sanılan duygu kaynağı) **5.** *mec* kalp (bir ülkenin, bir kuruluşun işleyiş, yönetim ve varlığını sürdürme bakımından en önde gelen yeri) **6.** *mec* kalp (duygu, his) * **pê re dil nîn** e onda kalp denen şey yok **7.** yürek (mide, bağırsak, karın) * **dilê wî li hev dikeve** yüreği (veya içi) bulanıyor 8. hatır (gönül, kalp) * **zinhar, dilê wî nehêlî** sakın onun hatırını kırma **9.** gönül (istek, arzu) * **dilê wê ji xwendinê re tune** okumaya gönlü yok **10.** öz ( bir kimsenin benliği, kendi manevi varlığı) * **gotina wî dilê min girt** sözleri özüme dokundu **11.** *mec* **iç** ~ **avêtin** kalp atmak ~ **berdan (tiştekî)** -e sevdasına düşmek ~ **berdan (yekê)** (birine) gönül vermek (veya bağlamak), gönül akıtmak, gönül kaptırmak kapılmak, bağlanmak, meyil vermek, tutulmak * **min dil berda rindiya wê** onun güzelliğine kapıldım ~ **bi (yekî) re tune bûn** (birinde) kalp olmamak ~ **bijandin xwe** gıcıklamak, cinsi istek uyandırmak * **here çavên ku li serê ne bibîne, dilê mirov dibijîne xwe** git de gözü onda gör, adamın yüreğini gıcıklıyor ~ **dan (yekî) 1)** (birine) gönül vermek (veya bağlamak) **2)** delinin eline değnek vermek (kötülük yapabilecek bir kimsenin davranışlarını kolaylaştırmak) ~ **dan berê** gönlünü almak ~ **di ber (tiştekî) de neanîn** gönlü razı olmamak, razı gelmemek ~ **dîtin** bir kişinin isteğini bilip yerine getirmek ~ **e li tiştekî nanêre** gönül ferman dinlemez ~ **fireh kirin** gönül açmak, iç açmak ~ **girtin** gönül çekmek, sevdalı olmak ~ **hiştin** kalp kırmak ~ **jê man** -den gönlü kalmak, küsmek, darılmak ~ **jê sar bûn** -den soğumak ~ **jê re xwestin** gönlü birinden yana olmak ~ **jê sar bûn** -den soğumak ~ **ji (yekî) çûn** kendinden geçmek (bayılmak) ~ **ji kê hez bike xweşik ew** e gönül kimi severse güzel odur ~ **ketin (yekî)** birine âşık olmak, vurulmak, gönül kaptırmak ~ **kirin** arzu etmek ~ **kirin (yekî)** (birine) gönül vermek, gönül akıtmak, aşık olmak ~ **kirin cih** yüreği ferahlatmak, yüreği hafifletmek, içini rahatlatmak ~ **ku şikest cebar nabe** yürek kırıldımı bir daha onmaz, yürek bir kırılmaya görülsün ~ **lê ronî bûn** benimsemek (bir şeye, birine bağlanmak, ısınmak) ~ **lê spî bûn (an jî nebûn)** birine inanmak, güven duymamak (veya inanmamak, güven duymamak) ~ **li hev xistin** bulantı vermek ~ **li (yekî) qerar dan** hazmetmek, sindirmek, kabullenmek ~ **li serê peritîn** yüreği parça parça olmak ~ **muqabilê** ~ **e** kalp kalbe karşıdır ~ **ne kasika bilxur** e gönül ferman dinlemez ~ **nebijîn (tiştekî)** tıkanmak, iştahsız olmak ~ **nerm kirin** ikna etmek, yumuşatmak ~ **niwaztin** gönül okşamak ~ **pê bar nedan 1)** (birini) çekememek **2)** havsalasına sığmamak, kabul edememek ~ **pê neşewitandin** kıymak (acımadan vermek, esirgememek, feda etmek) * **qet dil bi ew çend pere neşewitand** onca paraya kıymadı, harcadı ~ **pê şewitîn** -e acımak, yüreği yanmak ~ **pê ve bûn** gözü arkada olmak (veya kalmak) ~ **pê ve man 1)** gözü arkada kalmak **2)** acımak (bir şeyi vermeye veya elden çırmaya kıyamamak) ~ **pitpitîn (an jî pirpitîn)** yüreği çarpmak (merak, korku, kaygı gibi duygular sebebiyle beliren tedirginlik) ~ **şikandin** kalp kırmak ~ **şûşe ye ku bişikê nacebire** kalp cam misalidir kırıldı mı, kolay kolay onarılmaz ~ **tê kirin cih** içini ferahlatmak ~ **û devê (yekî) yek (an jî wekî hev) bûn** içi dışı bir olmak ~ **û gurçik bi (yekî) re tune bûn** (birinde) kalp olmamak ~ **û gurçik ji xwe re xwestin** her şeyin en iyisini kendine istemek ~ **û gurçikên (yekî) hatin xwarê** içi dışına çıkmak (kusmaktan rahatsız olmak) ~ **û gurçikên (yekî) jê re hatin xwarê** (birine) içi parelenmek ~ **û hinavê (yekî) jê re hatin xwarê** (biri) içini yakmak ~ **û kezeban diperitîne** yürekler acısı ~ **xwe ve** sözüm ona ~ **xwestin** arzu duymak, istemek ~ **dilan dihebînin** kalp kalbe karşıdır ~**an diperitîne** içler (veya yürekler acısı) ~**ekî rihet nedan (yekî)** (birine) rahat yüzü göstermemek ~**ekî rihet nedîtin** rahat yüzü görmemek ~**ê (yekî) arîn** kalbi sızlamak ~**ê (yekî) avêtin** yüreği çarpmak (kalp çarpmak veya çalışmak) ~**ê baranê hebûn** yağmurla-

mak (yağmur yağacak gibi olmak) ~ê (**yekî**) **baristan nedan** yüreği kaldırmamak ~ê (**yekî**) **baristan** (an jî **tehemûl**) **nekirin** içi götürmemek, vicdanına sığdıramamak ~ê **berfê** (an jî **baranê**) **hebûn** kar (veya yağmurun) yağmaya niyeti olmak ~ê (**yekî**) **bi** (**yekî**) **êşîn** (birine) acımak, merhamet etmek ~ê (**wî**) **bi halê** (**wî**) **şewitîn** derdine yanmak ~ê (**yekî**) **bi halê xwe şewitandin** (birini) kendine acındırmak ~ê (**yekê**) **bi ser de xwar bûn** (birine) gönlü meyilli olmak ~ê (**yekî**) **bi** (**yekî**) **şewitîn** (birine) acımak, merhamet etmek * **dilê min bi zar û zêçên wî şewitî, lewma min ew neda dadgehê** çoluğuna çocuğuna acıdım da mahkemeye vermedim ~ê (**yekî bi** (**wî**) **ve bûn** (birine) karşı birşeyler hissetmek ~ê (**yekî**) **bihurîn** (**borîn** an jî **xewirîn**) **1**) yüreği bayılmak, yüreği ezilmek, içi bayılmak içi geçmek **2**) içi (veya midesi) kazınmak (veya kıyılmak), açlıktan midesi eziklik duymak **3**) yüreği burkulmak (çok üzülmek, çok acı duymak) ~ê (**yekî**) **bijîn** (...) **1**) iştahı çekmek, canı çekmek * **gava min kebab dîtin wisa dilê min bijiya wan** kebabları görünce öyle bir canım çekti ki **2**) iştaha gelmek, arzulamak, gönlü çekmek **3**) iştahı kabarmak ~ê (**yekî**) **birîndar e** yüreği yaralı ~ê (**yekî**) **bixem e** yüreği delik, dertli ~ê (**yekî**) **borîn 1**) yüreği bayılmak, yüreği ezilmek, içi bayılmak (veya geçmek) **2**) içi (veya midesi) kazınmak (veya kıyılmak), açlıktan midesi eziklik duymak **3**) yüreği burkulmak (çok üzülmek, çok acı duymak) ~ê (**yekî**) **çargopal lê xistin 1**) yüreği hızla atmak **2**) kalp atışları hızlanmak (heyecan veya korkudan ötürü) ~ê (**yekî**) **çêkirin** (birinin) gönlünü etmek (veya yapmak) ~ê (**yekî**) **çûn** (**tiştekî**) canı çekmek, içi çekmek, iştahı çekmek, imrenmek * **gava min kebab dîtin wisa dilê min çû wan** kebabları görünce öyle bir imrendim ki * **dilê min çi qas diçe savarê gund** canım ne kadar da köy bulgurunu çekti ~ê **dêredêr** yaralı ve perişan gönül ~ê (**yekî**) **di ber re hatin** içi el vermek ~ê (**yekî**) **di ber re nehatin 1**) içi el vermemek, içine sindirememek **2**) azımsamak ~ê (**yekî**) **di cih de bûn** gönlü ferah (veya rahat) olmak ~ê (**wan**) **di hev de bûn** birbirine âşık olmak, (birbirine) yangın olmak ~ê (**yekî**) **di ser de hebûn** (birine) gönlü var olmak ~ê (**wî**) **di ser** (**wî**) **re çûn** içi bayılmak (çok acıkmak) ~ê (**yekî**) **di ser hev re qelibîn** içi bayılmak (çok şekerli veya yağlı yiyecek ağır gelmek) ~ê (**yekî**) **dizîn** kalbini çalmak ~ê (**yekî**) **dîtin** gönlünü almak ~ê **dê** ana yüreği ~ê **ewil** ilk göz ağrısı (ilk sevilen, âşık olunan kimse) * **cana min, ji bîr meke ku tu dilê min ê ewilî** canım, unutma sen benim ilk göz ağrımsın ~ê (**yekî**) **êşandin 1**) (birini) üzmek, incitmek **2**) yüreğini eritmek (veya sızlatmak) ~ê (**yekî**) **êşîn** yüreği ezilmek, yüreği sızlamak (üzülmek, acımak) ~ê (**yekî**) **fireh bûn 1**) yüreği ferahlamak (veya hafiflemek) **2**) göğsü kabarmak ~ê (**yekî**) **fireh bûn û çavê** (**yekî**) **vebûn** gözü gönlü açılmak ~ê (**yekî**) **fireh e** yüreği geniş ~ê (**yekî**) **fireh kirin** gönül açmak, iç açmak ~ê (**yekî**) **germ kirin** gönlünü ısıtmak, oyalamak, teseli vermek ~ê (**yekî**) **girtin** kalbe dokunmak ~ê (**yekî**) **gotin tirk** yüreği küt etmek (**ji**) ~ê (**yekî**) hatin içinden gelmek ~ê (**yekî**) **hatin ber devê** (**wî**) yüreği ağzına gelmek ~ê (**yekî**) **hatin devê** (**yekî**) yüreği ağzına gelmek ~ê (**yekî**) **hebûn 1**) (bir şeye) gönlü olmak 2) istekli olmak, niyeti olmak, meyilli olmak ~ê (**yekî**) **helîn** ödü kopmak ~ê (**yekî**) **hênik bûn** yüreğine su serpilmek ~ê (**yekî**) **hênik kirin** yüreğine su serpmek ~ ê (**yekî**) **hilavêtin** helecanlanmak ~ê (**yekî**) **hilneanîn** içimi bayıltmak veya kıymak (tatlı ağır gelip artık yiyememek) ~ê (**yekî**) **hilnedan** gönlü razı gelmemek ~ê (**yekî**) **hilpetikîn** yüreği hop etmek, yüreği hoplamak, yüreği yerinden oynamak) ~ê (**yekî**) **hiştin** gönlünü (veya kalbini) kırmak, gönül yıkmak, (birini) kırmak veya incitmek, (birinin) hatırını kırmak, gücendirmek ~ê **însan** Allahın evi (insan gönlü) ~ê (**yekî**) **jê cegirandî bûn** (birine) kırgın (veya kırılmış) olmak ~ê (**yekî**) **jê cebirîn** -e alınmak ~ê (**yekî**) **jê cegirîn** (birine) kırılmak, gücenmek ~ê (**yekî**) **jê cemidîn** (birinden) buz gibi soğumak ~ê (**yekî**) **jê li hev ketin** midesi almamak (kaldırmamak, kabul etmemek veya götürmemek) ~ê (**yekî**) **jê man** (birine) gücenmek, kırılmak, (birine) içerlemek ~ê (**yekî**) **jê re nexwestin** içi götürmemek, istememezlik etmek, çekememezlik etmek (kıskanmak, çekememek) ~ê (**yekî**) **jê stendin** kalbini çalmak ~ê (**yekî**) **jê re hebûn** (bir şeye) gönlü olmak, gönlü var gibi ~ê (**yekî**) **jê re peritîn** (birine) yüreği parelenmek ~ê (**yekî**) **jê sar bûn 1**) (birinden) soğumak, buz gibi soğumak **2**) -den umudunu kesmek ~ê (**yekî**) **jê sar kirin 1**) (birinden) buz gibi soğumasını sağlamak **2**) -den umudunu kırmak, -den umudunu kesmesini sağlamak ~ê (**yekî**) **jê tije bûn** birine karşı dolmak ~ê (**yekî**) **jêr de hatin** kusar gibi olmak ~ê (**yekî**) **ji bîr ve çûn 1**) içi (veya midesi) kazınmak (veya kıyılmak), yüreği bayılmak, yüreği ezilmek, safrası kabarmak (açlık duymak **2**) yüreği burkulmak (çok üzülmek, çok acı duymak) **3**) içine baygınlıklar çökmek, içi geçmek, baygınlık geçirmek (fenalık basmak) **4**) *mec* gözleri bayılmak (hayranlıkla bakmak) ~ê (**yekî**) **ji dinyayê sar bûn** haya-

(tiştekî) (bir şeyin) içine sıçmak ~ **kirin navê** içine etmek, bok etmek, sıçmak (bozmak, berbat etmek) * **te gû kire navê** sıçtın içine ~ **û mîz ji xwarinê ne** bok ile çiş yeme sonucu oluşurlar (birbirinin olmasa olmaz nedenleri) ~ **û nizanim çi** bok püsür (hoşa gitmeyen şey veya onun sıkıntı veren bürüzleri) ~ **xwarin** bok yemek, halt yemek ~ **ye** bok üstün bok, berbat (kaba) ~**yê gûxuran nayê xwarin** *argo* cimrinin sadakası alınmaz ~**yê hanê** bok (kaba konuşmada hor görülen, tiksinilen) ~**yê (yekî) hatin** büyük aptesi gelmek ~**yê hişk dicûn dipişkinînin (yekî)** belâsını başkasına sürmek ~**yê serê sibehê** bokun suyu, bok suyu (sövgü olarak)
**gûc** *rd* zor, çetin **lê ~ hatin** ağırlaşmak (hastalık için; fenalaşmak, tehlikeli duruma gelmek)
**gûç** *n* **1.** köşe **2.** *geo* açı
**gûçê fireh** *mat* geniş açı
**gûgerên** *bnr* gûgerîn
**gûgerîn** *zo/m* mayis böceği (Melolontha vulgaris)
**gûgerînk** *zo/m* bok böceği (Geotrupes stercorarius)
**gûhesin** *n* bok püsür, demir boku, demir cışığı, maden cürüfü
**gûhûşk** *bot/m* kızılcık
**gûjik** *bot/m* ardıç
**gûkirin** *m* sıçma
**gû kirin** *l/gh* sıçmak
**gûlik** *bot/m* çiriş otu (Asphdelus) ~**a zozanan** çiriş, yabanî pırasa
**gûlol** *m* sütlaç
**gûmik** *m* parmak ucu
**gûmişk** *n* fare pisliği
**gûms** *rd* keyifsiz, neşesiz
**gûn (I)** *bnr* gon (I)
**gûn (II)** *n* **1.** benz, beniz **2.** renk
**gûn (III)** *m* devran, dönem
**gûnegûne** *rd* renk renk
**gûnesmer** *rd* esmer tenli
**gûnî** *bot/m* geven (Astragalus)
**gûnroj** *bot/m* bir üzüm türü
**gûnya** *m* gönye
**gûnyakirin** *m* gönyeleme
**gûnya kirin** *l/gh* gönyelemek
**gûp** *m* avurt
**gûpik** *m* parmak ucu * **gûpika tiliyê** parmak ucu
**gûpir** *rd* altına sık sık büyük boy aptestini eden çocuk
**gûran** *nd* aşiret mensubu olmayan Kürtler
**gûrik** *m* kuluçka
**gûrisas** *m* cürüf
**gûriz** *bot/m* öküz dili, sığır dili (Anchusa oficinalis)
**gûrîş** *m* demet halindeki ekinin diplerinin yukarıya gelecek şekilde yanyana dizilmesi
**gûrnewt** *m* meşale
**gûrt** *m* kökertme, kökleme
**gûrtkirin** *m* **1.** kökertme, kökleme (bir ağaç veya bitkiyi kökü ile birlikte topraktan çıkarma) **2.** kökünü (veya kökünde) kazıma
**gûrt kirin** *l/gh* **1.** kökertmek, köklemek (bir ağaç veya bitkiyi kökü ile birlikte topraktan çıkarmak) **2.** kökünü (veya kökünde) kazımak
**gûse** *n* kılçık (balık kılçığı)
**gûsik** *m* sargı, bandaj
**gûsinc** *bot/m* iğde
**gûsk** *m* kadran
**gûstan** *bnr* distan
**gûstêrk** *zo/m* ateş böceği, yıldız böceği (Lampyris noctiluca)
**gûstok** *m* yüksük
**gûş (I)** *n* köşe
**gûş (II)** *m* kuşku, şüphe
**gûşî** *n* **1.** salkım * **gûşiyê tirî** üzüm salkımı **2.** koçan (mısır tanelerini taşıyan, üzeri yaprakla sarılı püsküllü meyvesi) * **gûşiyê gilgil** misir koçanı **3.** *bot* salkım (Wistaria sinensis) **4.** *lşk* salkım (top) ~ **girê dan** salkım bağlamak, koçan bağlamak ~ **girtin** salkım tutmak
**gûşîdar** *rd* **1.** salkımlı **2.** *m* salkım ağacı
**gûşîwar** *rd* salkımlı
**gûşokî** *rd* salkımsı
**gûtik** *bot/m* yenilir bir bitki
**gûtin** *bot/m* bir tür dikenli ot
**gûv** *m* in (yabani hayvanların barınağı)
**gûvik** *m* huni * **gûvika şîr** süt hunisi
**gûxur** *nd/nt* (argo) mıhsıçtı, kirli çıkı (veya çıkın), pis, pinti kimse
**gûxurî** *m/argo* mıhsıçtılık
**gûxwarin** *m* bok yeme
**gû xwarin** *l/gh* bok yemek ~ **para (yekî) bûn** (birine) bok yemek düşmek
**gûxwer** *nd/nt* **1.** *argo* mıhsıçtı, pis, pinti kimse **2.** bok yıyıcı * **qijika gûxwer** bok yiyici karga
**gûxwerek** *nd/nt* **1.** *argo* mıhsıçtı, pis, pinti kimse **2.** bok yıyıcı
**gûyo** *rd* bok (kaba konuşmada hor görülen, tiksinilen)
**gûz (I)** *bot/m* **1.** ceviz (Juglans regia) **2.** ceviz (bu ağacın meyvesi) **3.** *rd* ceviz (ceviz ağacından yapılmış şey) ~ **û kap li hev parî kirin** (biriyle) kozunu paylaşmak ~**a çav** göz küresi ~**a derewîn** yaban cevizi ~**a pûç di serê (yekî) de şikandin** kabak (birinin) başına (veya başında) patlatmak ~**a pûç di serê (yekî) de şikestin** (an jî **şikîn**) kabak

(birinin) başına (veya başında) patlamak ~ek ~zek dibe dîzek damlaya damlaya göl olur
**gûz (II)** *rd* kambur
**gûza çav** *ant/nd* göz küresi
**gûza esûs** *nd* **1.** çetin ceviz **2.** çetin ceviz ( yola gelmesi güç olan kimse)
**gûza hindê** *bot/m* **1.** hindistan cevizi (Cocos nucifera) **2.** hindistan cevizi (bu ağacın yemişi)
**gûza kor** *nd* **1.** çetin ceviz **2.** *mec* cimri
**gûza kwîr** *bnr* gûza kor
**gûzan** *m* ustura, yülgü
**gûza reş** *nd* kara ceviz
**gûza şaranî** *nd* kabuğu ince bir ceviz türü
**gûzbûn** *m* kamburlaşma
**gûz bûn** *l/ngh* kamburlaşmak
**gûzdar** *nd/nt* cevizci
**gûzdarî** *m* cevizcilik
**gûzek** *ant/m* **1.** ayak bileği, bukağılık **2.** pamuk kozası **~a derve** dış aşık çıkıntısı **~a hundir** iç ayak çıkıntısı
**gûzerk** *m* oğlak dışkısı
**gûzfiroş** *nd/nt* ceviz satıcısı
**gûzfiroşî** *nd/nt* ceviz satıcılığı
**gûzik (I)** *bot/m* **1.** koza (bitkilerde içinde tohum bulunan koruncak) * **gûzika pembû** pamuk kozası **2.** *bot* kozalak * **gûzika çamê** çam kozalağı **3.** şif, pamuk kozası, pamuk elması
**gûzik (II)** *ant/m* **1.** ayak bileği, bukağılık **2.** pamuk kozası **~a derve** dış aşık çıkıntısı **~a hundir** iç ayak çıkıntısı
**gûzik (III)** *ant/m* göz yuvarı
**gûzika çav** *ant/nd* göz yuvarı
**gûzika zengilorê** *ant/nd* Âdem elması, gırtlak çıkıntısı
**gûzikî** *rd* kozalaksı
**gûzşikên** *m* ceviz kırıcı, ceviz kıran
**gûzweşîn** *nd/nt* çırpıcı (ceviz çırpan)
**gûzweşînî** *m* çırpıcılık
**gûzweşînk** *m* sonbaharda ceviz toplama dönemi
**gwêşî** *m* salkım
**gwîc** *bnr* givîj
**gwîn** *m* beniz (yüz rengi)
**gwînesmer** *rd* esmer tenli
**gwînî** *bot/m* geven
**gwînîkurk** *bot/m* kısa boylu, dikenli bir geven türü
**gwînspî** *rd* beyaz tenli
**gwînşewit** *rd* yanık benizli
**gwîriz** *bot/m* öküz dili (Anchusa oficinalis)
**gwîz** *bnr* gûz
**gwîzan** *m* ustura, yülgü
**gwîzdan** *m* safra kesesi
**gwîzek** *bnr* gûzek
**gwîzik** *bot/m* pamuk elması, pamuk kozası
**gwîzok** *bnr* gûzek

# H

**h, H 1.** Kürt alfabesinin onuncu harfi olup *hê* diye okunan bu ses, fonetik bilimi bakımından damaksı, gırtlak ötümsüz sürekli ünsüzü gösterir **2.** *mzk* nota işaretlerini harfle gösterme yönteminde *si* sesini gösterir

**H** *kîm* H (hidrojenin kısaltması)

**ha (I)** *b* **1.** ha (istek uyandırmak için kullanılır) *. **ha ez bibînim!** ha göreyim seni! **2.** ha (şaşma anlatır) * **hema jî yeke xweşik e ha** amma da güzelmiş ha **3.** ha (dikkat çekmek, uyarmak için kullanılır) * **zinhar ha, min navê ku tu bigirî** sakın ha, ağlamanı istemiyorum **4.** ha (bir şeyin birdenbire hatırlandığını veya kavrandığını anlatır) * **ha, niha min fêm kir** ha, şimdi anladım **5.** *g* ha (tekrarlanarak kullandığında eşitlik anlamı verir) * **ha ez hatime ha ew** ha ben gelmişim ha o **6.** ha (fiil ile, işin uzadığı ve bundan bıkıldığı anlatılır) * **bixebite û ha bixebite** çalış ha çalış **7.** ha, ha ...ha (neredeyse, hemen yakında) * **baran ha lê kir ha li lê kir** yağmur ha yağdı ha yağacak **8.** *b* hah * **ha, ew jî hat** hah, oda geldi **9.** *b* hop (uyarma amacıyla kullanılır) **10.** *b* na, nah * **ha yeke din jî!** na, bir tane daha! **11.** *h* işte (anlatılan bir sözün sonucuna gelindiğini gösterir) * **hemû mesele ev e ha** işte bütün mesele bu **12.** işte (anlatılan şeye dikkat çekmek için) * **hûn dê bipirsin we çima negot, ha ji bo vî tiştî** niçin söyleyemedin diyeceksininz; işte bunun için **13.** böylesi **14.** ha, öyle **15.** haydi * **ha wer tirî, ha wer tirî** haydi üzümü gelin üzüme **16.** *b* ıhı ~ **bavê min** (an jî ~ **bavê min** ~) **1)** ha babam veya ha babam ha (karşısındakinin çabasını artırmak için) **2)** ha babam veya ha babam ha (sürekli olarak, hiç durmadan) * **ha bavê min ha, hema diepişande devê xwe** ha babam atıştırıyordu ~ **bavê minino ha** ha benim babam, ha gayret ~ **bila bibêje** ~ **bila bibêje** istediği kadar söylesin ~ **... dît** *h* birdenbire * **ha me dît deriyê odeya ku em lê bûn, vebû** birden bire bulunduğumuz odanın kapısı açılıverdi ~ **dîtin ji ber çavan rakirin** bıçak gibi kesmek (birdenbire ve tamamen ortadan kaldırmak) ~ **dîtin ku li (cihekî) bûn** kendini bir yerde bulmak * **ha me dît ku em li nav bostan in** kendimizi bostanda bulduk ~ **dîtin qedandin** bittiye (veya olup bittiye) getirmek ~ **ev** ~ **ew** ha bu ha o ~ ~ **1)** hop hop! * **ha ha tu dê pêlî zarokê bikî** hop hop çocuğa basacaksın **2)** tamam tamam (bir düşünceyi, bir olayı doğruluğunu ispatlamaya çalışılırken kullanılır) **3)** aheste ahest **4)** bak sen (yapma anlamında) ~ **Hesen keçel** ~ **Keçel Hesen** (an jî ya **Hesen keçel ya Keçel Hesen)** ha Hoca Ali ha Ali Hoca ~ **hû** inleme, sızlama için ~ **îro** ~ **sibehê** ha bu gün ha yarın ~ **îro sibeh** akşamlık sabahlık (nerede ise, kaçınılmaz sonuç pek yakın) ~ **ji te re 1)** al! * **ha ji te re tersiyek** al bir aksilik al sana bir ...daha **2)** * **ha ji te re belayeke din** al sana bir belâ daha ~**ji te re bike çavê xwe** başında paralansın (yapılan bir iyilik çok söylendiğinde o iyiliğin artık istenmediğini belirten söz) ~ **ji we re!** alın! * **ha ji we re tersiyek** alın bir aksilik daha ~ **kurê** wış (bayanlar kullanır) ~ **li Mûşê ha li pişt dergûşê** uzaklık fark etmez ~ **li saqê** ~ **li qirikê 1)** anasmı sat! (veya satayım!) **2)** battı balık yan gider ~ **li vir û ha li wir gerîn** orası senin, burası benim dolaşmak (veya gezmek) ~ **me dît 1)** pattadak, pattadan ~ **2)** kaşla göz arasında ~ **te wisa bizanibûya** ~ ha şunu bileydin ~ **tiredîno** ~ hoppala bebek ~ **xayret** ha gayret ~ **wa** nah işte ~ **wisa** ha şöyle, hah şöyle ~ **yelah** hoppala (küçük çocukmlar atlarken onları yüreklendirmek için söylenilir) ~ **yelah** ~ **1)** ha babam veya ha babam ha (karşısındakinin çabasını artırnak için) **2)** ha babam veya ha babam ha (sürekli olarak, hiç durmadan) * **ha yelah ha, he-**

**ma diepişande devê xwe** ha babam atıştırıyordu ~ **yelah ~ yelah** ala ala
**ha (II)** *c* bu, şu (bir tür işaret zamiri)
**habitandin** *m* ürkütme
**habitandin** *l/gh* ürkütmek
**habitîn** *m* ürkme
**habitîn** *l/ngh* ürkmek
**habtoyî** *rd* ürkek
**habtoyîbûn** *m* ürkekleşme
**habtoyî bûn** *l/ngh* ürkekleşmek
**habtoyîkî** *rd/h* ürkekçe
**habtoyîtî** *m* ürkeklik
**hac (I)** *bnr* haj ~ **û bac** *bnr* haj û bac
**hac (II)** *ol/m* **1.** hac (genellikle tek tanrılı dinlerde kutsal olarak tanınan yerleri, o dinden olanlarca yılın belirli aylarında ziyaret edilmesi) **2.** hac (İslamın beş şartından biri olan, Müslümanlarca zilhicce ayında Mekke'de yapılan Kabe'yi ziyaret ve tavaf töreni) ~ **bi wesiyetan nabe** her iş ısmarlamayla olmaz **~a xwe kirin** haccetmek
**hacet** *n* **1.** âlet, araç * **berek hacetekî xiratiyê ye** testere bir marangoz âletidir ~ **û macet** âlet adavat **2.** *mec* penis
**hacî** *nd/nt* **1.** haci (dini buyruklarını yerine getirmek için hacca gitmiş Müsülman) **2.** hacı (Kudüs'ü, Efes'i veya başka kutsal bir yeri ziyaret etmiş Hristiyan) ~ **axa** hacı ağa
**hacîle** *bot/m* buğday tarlasında biten bir tür yabanî ot
**hacîlegleg** *zo/nd* leylek
**hacîlok** *m* **1.** tokat (tarla, bahçe vb. kapısı, eğreti kapı) **2.** kafes (çubuklarla örülmüş ve pencerelere takılabilen siper)
**hacîr** *m* hacir, kısıt, kısıtlılık
**hacîreş** *bnr* hacîreşk
**hacîreşk** *zo/m* kırlangıç (Hirundo)
**hacîrker** *rd* kısıtlayıcı
**hacîrkirî** *rd* hacirli, kısıtlı
**hacîrkirîbûn** *m* hacirlilik, kısıtlılık
**hacîrkirin** *m* hacir etme, kısıtlama
**hacîr kirin** *l/gh* hacir etmek, kısıtlamak
**hacîtî** *m* hacılık
**hackirin** *m* hacetme
**hac kirin** *l/gh* **1.** haccetmek (Müslümanların Kabeyi ziyaret ve tavaf töreni) **2.** haccetmek (Hristiyanların kutsal yerleri ziyaret etmesi)
**hacm** *m* oylum
**hacûc** *n* cüce
**hacûcî** *m* cücelik
**haç** *m* sandviç
**haçik** *bnr* heçû
**hadan** *bnr* nezan
**hadê** *b* **1.** hadi, haydi (isteklendirmek, çabukluk belirtmek için kullanılır) * **hadê zarino** haydi çocuklar **2.** hadi, haydi (ihtimal belirtir) * **ji niha bi şûn de ez dê deh sal emir bikim, bîst sal bikim, haydê bila sî sal be** bundan sonra on sene mi yaşarım, yirmi mi, haydi otuz sene olsun **3.** hadi, haydi (hafifseme, alay belirtir) * **hadê hadê here van tiştan ji yekî din re bibêje** hadi bunları başkasına anlat **4.** hadi, haydi (hoş görme anlamında kullanılır) * **haydê nehat, qene bila xeberek bişanda** hadi gelmedi, bari haber gönderseydi ~ **bila** hadi, haydi (kabul ve onamayı belirtir) * **hadê bila wekî te be** hadi senin gibi olsun ~ ~ **1)** hadi hadi (kısa kes, işi uzatma, bizi aldatamazsın anlamlarında kullanılır **2)** hadi hadi (çabukluk, acele bildirir) * **hadê hadê em diçin** hadi hadi gidiyoruz ~ **ji nû** ve sil baştan
**hadêr** *bnr* hazir
**hadîse** *m* hâdise, olay ~ derxistin hâdise çıkarmak
**haf** *m* **1.** yukarı * **piştî xwarinê derkete hafê** yemekten sonra yukarı çıktı* **derkeve hafê** yukarı çık **2.** uc nokta **3.** huzur, karşı, kat, nezt, ön * **dixwazin derkevin hafa we** huzurunuza çıkmak istiyorlar * **derê hafa serek** başkanın katına çık * **her du bi hev re derketin hafa midur** ikisi birden müdürün karşısına çıktılar her
**hafa** *m* boyunduruk ortasındaki deliklere konulan ağaç
**hafandin** *m* apıştırma
**hafandin** *l/gh* apıştırmak (hayvan için)
**hafik (I)** *m* kasasız pencere
**hafik (II)** *m* boyunduruk ile ok demirini birbirine bağlayan kama benzeri bir karasaban parçası
**hafil** *m* **1.** sonuç, netice **2.** fayda
**hafiz** *rd* **1.** hafız, koruyan, esirgeyen **2.** hafız (Kuran'ı bütünüyle ezbere bilen ve okuyabilen kimse) **3.** *mec* âma (gözleri görmeyen)
**hafize** *m* **1.** hafıza, bellek **2.** bellek, hafıza (bilgisayar belleği için)
**hafizedar** *rd* hafızalı
**hafiztî** *m* **1.** hafızlık (hafız olma durumu) **2.** hafızlık (hafızlık görevi) **3.** âmalık
**hafîn** *m* apışma
**hafîn** *l/ngh* apışmak (hayvan yorgunluktan çöküvermek)
**hafniyûm** *kîm/m* Hafniyum (Kopenhag şehrinin eski adı Hafnia'dan; kısaltması Hf)
**hafoyî** *rd* apışmış (hayvan)
**hag** *bnr* hay
**hah** *b* hah * **hah min ê jî ew tişt bigota** hah, bende onu diyecektim
**haha (I)** *b* hahha, hahhah (alaylı, yapmacıklı gülüş)
**haha (II)** *b* kuş kovma ünlemi
**hahak** *h* alelâcele
**hahake** *h* alelâcele
**hahinga** *bnr* hanhanka
**hahî kirin** *l/gh* dengbej türkü söylerken es verdiği zaman sesle ara nağme yapmak
**hahnyûm** *kîm/m* hahnyum (kısaltması Ha)

**haho** *b* **1.** imdat (yetişin, kurtarın) **2.** hele bak **3.** aman Allahım
**hahû** *b* **1.** olur mu, olacak şey mi, sende ha **2.** bir isteği, bir durumu beğenmemeyi anlatır
**haj** *m* **1.** haber, bilgi (bir olay, bir olgu üzerine edinilen bilgi, salık) * **haja şagirt ji tiştekî nîn e** çırağın bir şeyden haberi yok **2.** bilgi, haber, malûmat (insan aklının erebileceği olgu, gerçek ve ilkelerin bütün) * **haja wî ji hunerê nîn e** sanattan haberi yok ~ **pê bûn** -den haberdar olmak, bilgisi olmak ~ **pê xistin** haber vermek, haberdar etmek ~ **û bac** bilgi, malûmat ~**a (yekî) jê çêbûn** (bir şeyden) haberi olmak ~**a (yekî) pê xistin** (birine) haber vermek, (birini) haberdar etmek, haberlendirmek
**hajdar** *rd* âgah, haberdar, haberli ~ **bûn** haberdar olmak ~ **kirin** haberdar etmek
**hajdarî** *m* bilgilendirme, imformasyon
**haj jê hebûn** *l/bw* (biri bir şeyden) haberdar olmak, -den bilgisi olmak
**haj pê hebûn** *l/bw* (biri bir şeyden) haberdar olmak, -den bilgisi olmak
**hajyar** *nd/nt* sürücü
**hajyarî** *m* sürücülük
**hakem** *nd/nt* **1.** hakem, yargıcı **2.** *sp* hakem
**hakemê kêlekê** *sp/nd* yan hakem
**hakemê teniştê** *sp/nd* yan hakem
**hakemî** *m* **1.** hakemlik, yargıcılık **2.** *sp* hakemlik
**hakemtî** *m* **1.** hakemlik, yargıcılık **2.** *sp* hakemlik
**hakim** *nd/nt* **1.** hâkim, egemen * **hakimê bajêr** şehrin hâkimi **2.** yargıç, hâkim * **li dadgehê li hemberî hakim his û pis jê derneket** mahkemede hâkimin karşısında sus pus oldu **3.** hâkim (duygu, davranış vb.yi iradesiyle denetleyebilen kimse) * **ji hêrsa xwe re hakim e** esinirlerine hâkim birisi **4.** *biy* hakim, başat **5.** *rd/nd* hakim, bilge **6.** *mec* asil, soylu
**hakimane** *h* **1.** hâkimane **2.** bilgece **3.** asilce, soyluca
**hakimbûn** *m* hâkim olma, egemen olma
**hakim bûn** *l/ngh* hâkim olmak, egemen olmak
**hakimbûyîn** *m* hâkim oluş, egemen oluş
**hakimiyet** *m* hâkimiyet, hâkimlik, egemenlik
**hakimî** *m* **1.** hâkimlik, egemenlik **2.** hâkimlik, yargıçlık
**hal (I)** *n* **1.** hâl, durum, vaziyet (bir şeyin içinde bulunduğu şartların veya taşıdığı niteliklerin bütünü) * **her kes li gor halê xwe diyariyek da** her kes hâline göre bir hediye verdi **2.** hâl, tutum (davranış, tavır) * **ez çu tiştî jê vî halê te fehm nakim** senin bu hâline bir anlam veremiyorum **3.** hâl (şimdiki zaman içinde yaşanılan zaman) * di vî halî **de tiştekî** **naşê** bike bu hâlde bir şey yapamaz **4.** hâl (güç, kuvvet, takat) * **halê min tune ku ez derkevim derve** dışarıya çıkacak hâlım yok **5.** hal (kötü durum, sıkıntı, dert) * **ev çi hal bûn hatin serê wê** başına ne hâller geldi **6.** hâl, hatır (durum, keyif) * **li halê wê pirsîn** hatırını sormak **7.** dünya (duygu, düşünce ve hayal âlemi) * **her kes di nav halê xwe de** her kes kendi dünyasının içinde ~ **lê neman** hâli kalmamak ~ **ne xweş bûn** durumu kötüleşmek, geri gitmek ~ **tê de neman** hâli kalmamak ~ **tê de tune ku cilika xwe ji avê derxe** paçasını çekecek (veya toplayacak) hâli olmamak **li ser** ~ **û hemdê (...) hiştin** kendi hâlinde bırakmak * me ew li ser hal û hemdê wî hişt onu kendi hâlinde bıraktık **li ser** ~ **û hemdê xwe man** kendi hâlinde kalmak ~ **û hewal 1)** hâl (kötü durum, sıkıntı, dert) * **ev çi hal û hewal bûn hatin serê wê** başına ne hâller geldi **2)** hatır * **li hal û hewalê we pirsî** hatırınızı sordu ~ **û hewal pirsîn** hâl hatır sormak ~ **û wextê (yekî) li cih** (an jî **li rê**) **bûn** hâli vakti yerinde olmak * **hal û wextê malbatê li cih e** ailenin hâli vakti yerinde ~ **û malê (wî)** ötesi berisi ~ **û perg** hâl, durum * **hûn hal û pergê me nabînin benim?** durumumu görmüyor musunuz? ~ **xweş bûn** hâli vakti yerinde olmak, maddî durumu iyi olmak **(tiştek) di** ~**ekî de hiştin** (bir şeyi) kendi halinde bırakmak ~**ekî perîşan** içler (veya yürekler acısı) durum ~**ê (yekî) bi keys bûn** hâli tavrı yerinde olmak (görünüşü, durumu düzgün olmak) ~**ê hazir** hâlihazır ~**ê helawçî** kötü, perişan durum ~**ê însanetiyê ye** insanlık hâli ~**ê însanetiyê ye, lê megirin** insan hâlidir, kınamayın ~**ê (yekî) ne xweş bûn 1)** hâli (veya hâlleri) duman olmak **2)** durumu bozulmak ~**ê nehal** kötü durum ~**ê (yekî) perîşan** (an jî **xerab**) **bûn** hâli harab olmak ~**ê ruhî** haletiruhiye ~**ê şîngirtinê** matem havası ~**ê (yekî) wekî** ~**ê çivîkê bûn** kuş kadar canı olmak ~**ê wî çi ye hereketê wî çi ye** kedi (veya eti) ne, budu ne? (yaşı küçük) ~**ê wî têr xweş e** durumu gayet iyi (maddi yönden) ~**ê (yekî) xerab bûn** hâli (veya hâlleri) duman olmak **(tiştek) di** ~**ê xwe de bûn** (bir şeyi) kendi halinde bırakmak **bi** ~**ê xwe ye** kendi âleminde ~**ê (yekî) xweş bûn** durumu düzelmek ~**ê xwe xweş kirin** durumunu düzeltmek ~**ên wan xerab bûn** hâlleri duman olmak
**hal (II)** *m* hal (genellikle üstü kapalı pazar yeri) * **hala mesiyan** balık halı
**hal (III)** *bj/m* **1.** grip, enflüanza, paçavra hastalığı **2.** bir tür ateşli hastalık **3.** havale (bir çeşit çırpınmalı, bazen ateşli olan hastalık) ~ **gihîn (yekî)** havale geçirmek ~**a kovî** bir tür ateşli hastalık ~**a reş** paçavra hastalığı
**hal (IV)** *m* hale, ayla, ağıl (ayın etrafında görülen ışık halkası)

**hal** (V) *bnr* mal û hal
**halan** (I) *n* mermer
**halan** (II) *m* 1. nara 2. tahrik ~ **di (yekî) dan** (birine) cesaret vermek, (birine) tahrik edici sözler sarfetmek, (birini) kışkırtmak için sözler sarfetmek ~ **di hev dan** (birbirine) meydan okumak ~ **di xwe dan** 1) nara atmak 2) meydan okumak, kokorozlanmak
**halanhildan** *m* nara atma
**halan hildan** *l/gh* nara atmak
**halankar** *bnr* halanker
**halankarî** *bnr* halankerî kışkırtıcı
**halanker** *nd/nt* 1. tahrikçi, kışkırtıcı 2. özendirici, teşvik edici
**halankerî** *m* 1. tahrikçilik, kışkırtıcılık 2. özendiricilik, teşvik edicilik
**halantêdan** *m* 1. kışkırtma, yiğitlendirme 2. kışkırtma, provakasyon
**halan tê dan** *l/bw* 1. kışkırtmak, yiğitlendirmek 2. kışkırtmak, provake etmek
**halantêdayîn** *m* 1. kışkırtış, yiğitlendiriş 2. kışkırtış
**halantêder** *nd/rd* provakatör
**halantêderî** *m* provakatörlük
**hala reş** *m* kara humma
**halav** *bnr* alav
**halavtin** *m* kullanma
**halavtin.** *l/gh* kullanmak
**hal bi hal** *g* 1. oysa 2. *h* gerçekte aslında
**halbûkî** *g* halbuki, oysa, oysaki
**hale** *m* hale, ayla, ağıl
**halet** (I) *n* halet, hâl, durum
**halet** (II) *n* 1. âlet, araç 2. karasaban
**haletçêker** *n* karasaban ustası
**haletfiroş** *n* karasaban satıcısı
**halhalik** *nd* sahte gözyaşları
**halik** (I) *bnr* hal (III)
**halik** *n* 1. hâl, durum, vaziyet 2. hâl (güç, kuvvet, takat) ~ **û malikê (yekî)** gücü kuvveti, eti butu ~ **û malikê (yekî) ev bûn** gücü kuvveti-e olmak, eti butu -e olmak
**halî** *m* bir yaşında buzağı
**halîbûn** *m* öğrenme
**halî bûn** *l/ngh* öğrenmek
**halîkar** *bnr* alîkar
**halîkirin** *m* öğretme
**halî kirin** *l/gh* öğretmek
**halîta** *kîm/m* halita, alaşım
**halko** *g* halbuki, oysa, oysaki
**halnexweş** *rd* ezgin (paraca durumu kötü olan)
**halnexweşî** *m* ezginlik
**halo** *rd/h* böyle, böylesi ~ **hatiye wê** ~ **jî here** böyle gelmiş böyle gider
**halojen** *kîm/m* halojen
**halpirsîn** *m* hâl hatır sorma
**hal pirsîn** *l/gh* hâl hatır sorma
**halter** *sp/m* 1. halter (birbirine sapla bağlanmış iki gülle veya disklerden yapılmış araç) 2. halter (bu aracı kaldırmayı amaçlayan spor dalı)
**halterhilgir** *nd/nt* halterci
**halterhilgirî** *m* haltercilik
**halû** *rd* kamışmış (diş için)
**halûb** *m* dağar (ağzı yayvan, dibi dar toprak kap)
**halûbûn** *m* kamaşma (diş için)
**halû bûn** *l/ngh* kamaşmak (diş için)
**halûbûyîn** *m* kamaşma (diş için)
**halûce** *bnr* alûce
**halû kirin** *l/gh* kamıştırınak (diş için)
**halûkirin** *m* kamıştırma (diş için)
**halûv** *bnr* halûb
**halwe** *g* halbuki, oysa, oysaki
**halxweş** *rd* 1. sıhhatli, sıhhati yerinde 2. gönençli, müreffeh 3. iyi hallı, varlıklı, variyetli (hali vakti yerinde, tıkırı yolunda, zengin)
**halxweşbûn** *m* 1. onma, salâh bulma 2. hâli vaktı yerinde olma, tıkırı yolunda olma (veya gitme) 3. zenginleşme, palazlanma, palazlama
**halxweş bûn** *l/ngh* 1. onmak, salâh bulmak 2. hâli vaktı yerinde olmak, tıkırı yolunda olmak (veya gitmek) 3. zenginleşmek, palazlanmak, palazlamak
**halxweşbûyîn** *m* 1. onma, salâh buluş 2. hâli vaktı yerinde oluş, tıkırı yolunda olma (veya gitme) 3. zenginleşme, palazlanış, palazlayış
**halxweşî** *m* 1. sıhhati yerinde olma 2. gönenç, refah 3. varlıklılık, variyet, varlıklı olma durumu (zenginlik)
**hambûrger** *m* hamburger
**hambûrgervan** *nd/nt* hamburgerci
**hamî** *rd* yarı deli
**hamîtî** *m* yarı delilik durumu
**hamoş** *rd* haram
**hamûd** *n* 1. hamut 2. beşikteki iki kavisli ağacı arası 3. yüklemek için deve sırtına vurulan yüklük
**hamûn** *m* düzlük, düz yer, düzey
**hamût** *bnr* hamûd
**han** (I) *c* 1. bu, şu (bir tür işaret zamiri) 2. bir kaç
**han** (II) *m* imdat * **Xwedê li hana me hat** Allah imdadımıza yetişti **di ~a (yekî) de hatin** imdadına gelmek **li ~a (yekî) çûn** imdadma gitmek
**han** (III) *m* özendirme, teşvik ~ **dan** özendirmek, teşvik etmek
**hanan** *ant/m* rahim
**handan** *m* 1. özendirme, teşvik, teşvik etme, isteklendirme 2. güdülenme, motive, motivasyon 3. *kîm* kataliz
**han dan** *l/gh* özendirmek, teşvik etmek, isteklendirmek
**handanî** *rd* 1. özendirici, teşvik edici 2. motivasyonal
**handayîn** *m* özendirme, teşvik etme

**handayîn** *m* özendiriş, teşvik ediş, isteklendiriş
**hander** *nd/rd* **1.** özendirici, teşvik edici, isteklendirici **2.** güdülendirici, motive edici **3.** *kîm/m* katalizör
**hander** *m* **1.** özendiricilik, teşvik edicilik, isteklendiricilik **2.** güdülendiricilik, motive edicilik
**handêr** *bnr* hander
**handêrî** *bnr* handerî
**hanê** *rz* işaret sıfatlarından
**hanê manê** *nd* bir oyun adı
**hangar** *m* hangar
**hangulîsk** *m* yüzük ~ **pê ve kirin** yüzük takmak
**hanhanga** *bnr* hanhanka
**hanhanka** *rd/h* **1.** çarçabuk, alelâcele, ivedilikle **2.** *h* hemencecik, takadak şipşak **3.** apar topar, palas pandıras **(tiştek)** ~ **dan** dayamak (vakit geçirmeden, bekletmeden vermek) * **îstifaya xwe hanhanka da** istifasını dayadı
**hanîn** *bnr* anîn
**hanka** *rd/h* çarçabuk, alelâcele, ivedilikle
**hankirî** *rd* **1.** özendirilmiş, teşvik edilmiş **2.** motive edilmiş olan
**haplolojî** *rz* haplolojî, orta hece yutumu
**hapt** *m* ürküntü
**haptoyî** *rd* ürkek
**haptoyîbûn** *m* ürkekleşme
**haptoyî bûn** *l/ngh* ürkekleşmek
**haptoyîtî** *m* ürkeklik
**haqan** *dîr/n* hakan
**haqantî** *m* hakanlık
**haqhaq** *rd* alışılmışın dışında gölmeye sahip kimse
**har** *rd* **1.** azgın, kuduruk (çoşkun, deli) * **dînê har** azgın deli **2.** azgın, kuduruk, kudurgan, yaramaz (çok yaramaz çocuk) **4.** azgın (cinsel istekleri aşırı olan) **4.** azgın (ten için, çabuk iltihaplanan, yarası hemen kapamayan) **5.** kuduz (kuduz hastalığına yakalanmış) **6.** keskin (içecek ve yiyecekler için) * **îsot pir har e** biber çok keskin **7.** çılgın **8.** hırçın **9.** koyu (bazı nitelikleri için; aşırı) **10.** kudurgan, kuduruk **11.** acar * **segê me har e** köpeğimiz acar ~ **bûn** harı başına vurmak ~ **û hac** azgın, şımarık ~ **û dîn** kudurgan
**harakîrî** *m* harakiri
**haramonîkirî** *rd* aforozlu
**harbûn** *m* **1.** azma, azgınlaşma (taşkınlıkta ileri gitme) **2.** azma, taşma, kabarma (deniz, ırmak vb. için) **3.** azma (yara, hastalık vb. için; etkili, tehlikeli duruma gelme) **4.** azma, azgınlaşma (cinsel duyguları artma) **5.** çıldırma **6.** hırçınlaşma **7.** kudurma **8.** yüzlenme, şımarma
**har bûn** *l/ngh* **1.** azmak, azgınlaşmak (taşkınlıkta ileri gitmek) * **zarok har bûn** çocuklar azdı **2.** azmak, taşmak, kabarmak (deniz, ırmak vb. için) * **çem har bûye** nehir azmış **3.** azmak (yara, hastalık vb. için; etkili, tehlikeli duruma gelmek) **4.** azmak, azgınlaşmak (cinsel duyguları artmak) **5.** çıldırmak * **ku li malê pirtûk jî nebûna, bawer bike ez dê har bibûma** evde kitaplar da olmasa inan çıldıracağım **6.** hırçınlaşmak **7.** kudurmak **8.** yüzlenmek, şımarmak
**harbûnî** *m* **1.** azgınlık **2.** kudurganlık **3.** azgınlık, şımarıklık, yaramazlık ~ **kirin 1)** azgınlık yapmak **2)** yaramazlık yapmak
**harbûyî** *rd* **1.** azgın **2.** kuduruk **3.** kuduz (kuduz hastalığına yakalanmış)
**harbûyîn** *m* **1.** azış, azgınlaşma (taşkınlıkta ileri gitme) **2.** azış, taşış, kabarış(deniz, ırmak vb. için) **3.** azış (yara, hastalık vb. için; etkili, tehlikeli duruma gelme) **4.** azış, azgınlaşma (cinsel duyguları artma) **5.** çıldırış **6.** hırçınlayış **7.** kuduruş **8.** yüzlenme, şımarış
**harç** *bnr* xercî
**harddîsk** *m* harddisk
**hare** *m* hare, meneviş
**harem** *m* **1.** harem (saray ve konaklarda kadınlara ayrılan bölüm) **2.** harem (bu bölümde oturan kadınların hepsi)
**haremasî** *zo/m* kılıç balığı
**haremgeh** *m* harem (saray ve konaklarda kadınlara ayrılan bölüm)
**harhare** *rd* **1.** azgın **2.** azgın (çok yaramaz çocuk) **3.** çılgın **4.** hırçın **5.** kudurgan
**harharebûn** *m* **1.** azgınlaşma **2.** azgınlaşma (çok yaramaz olma) **3.** çılgınlaşma **4.** hırçınlaşma **5.** kudurma
**harhare bûn** *l/ngh* **1.** azgınlaşmak **2.** azgınlaşmak (çok yaramaz olmak) **3.** çılgınlaşmak **4.** hırçınlaşmak **5.** kudurmak
**harharebûyîn** *m* **1.** azgınlaşma **2.** azgınlaşma (çok yaramaz olma) **3.** çılgınlaşma **4.** hırçınlaşma **5.** kuduruş
**harharekirin** *m* **1.** azgınlaştırma **2.** azgınlaştırma (çok yaramaz hale getirme) **3.** çılgınlaştırma **4.** hırçınlaştırma **5.** kudurtma
**harhare kirin** *l/gh* **1.** azgınlaştırmak **2.** azgınlaştırmak (çok yaramaz hale getirmek) **3.** çılgınlaştırmak **4.** hırçınlaştırmak **5.** kudurtmak
**harharetî** *m* **1.** azgınlık **2.** azgınlık (çok yaramaz çocuk için) **3.** çılgınlık **4.** hırçınlık **5.** kudurganlık ~ **kirin 1)** azgınlık yapmak **2)** çılgınlık yapmak **3)** hırçınlık etmek, hırçınlık yapmak
**harhareyî** *h* **1.** azgınca **2.** çılgınca **3.** hırçınca **4.** kudurganca
**harik** *bot/m* çoban çantası (Capsella bursa pastoris)
**harî** *m* **1.** azgınlık **2.** (cinsel) azgınlık **3.** çılgınlık **4.** hırçınlık **5.** kudurganlık **6.** *bj* kuduz
**harîker** *bnr* alîkar

**harîkar** *bnr* alîkar
**harîkar bûn** *bnr* alîkar bûn
**harîkarî** *bnr* alîkarî
**harî kirin** *bnr* alî kirin
**harîqulade** *rd* harikulâde, olağanüstü
**harîtî** *m* **1.** azgınlık **2.** (cinsel) azgınlık **3.** çılgınlık **4.** hırçınlık **5.** kudurganlık **6.** kuduzluk
**hark** *bnr* şûv
**harker** *rd* **1.** azdırıcı **2.** kudurtucu
**harkirin** *m* **1.** azdırma, azıtma, azgınlaştırma **2.** azdırma (azgın duruma getirme) **3.** azdırma (şımartma) **4.** azdırma (kötü alışkanlık veya davranışlara sürükleme, yoldan çıkarma) **5.** azdırma (taşmasına, kabarmasına neden olma) **6.** azdırma, azgınlaştırma (cinsel duyguları artırma) **7.** çıldırtma **8.** hırçınlaştırma **9.** kudurtma
**har kirin** *l/gh* **1.** azdırmak, azıtmak, azgınlaştırmak **2.** azdırmak (azgın duruma getirmek) * **kevir avête kûçikê har kir** taş atarak köpeği azdırdı **3.** azdırmak (şımartmak) * **bi destê zarokan re çûne, ew hey car har kirine** yüz verip çocukları azdırmışlar **4.** azdırmak (kötü alışkanlık veya davranışlara sürüklemek, yoldan çıkarmak) * **hevalên wî zarok har kirin** arkadaşları çocuğu azdırdılar **5.** azdırmak (taşmasına, kabarmasına neden olmak) **6.** azdırmak, azgınlaştırmak (cinsel duyguları artırmak) **7.** çıldırtmak **8.** hırçınlaştırmak **9.** kudurtmak
**harkirî** *rd* **1.** azıtılmış azdırılmış olan **2.** şımartılmış **3.** çılgınlaştırılmış **4.** hırçınlaştırılmış
**harlak** *m* beşik sallama ağacı (uzunlamasına)
**harmal** *m* üzelik (nazara karşı koruduğuna inanılır)
**harmoniyûm** *m* harmonyum
**harmonî (I)** *mzk/m* harmoni, armoni
**harmonî (II)** *m* afaroz
**harmonîbûn** *m* afaroz edilme
**harmonî bûn** *l/ngh* afaroz edilmek
**harmonîbûyî** *rd* afaroz edilmiş olan
**harmonîbûyîn** *m* afaroz ediliş
**harmonîkirin** *m* afaroz etme
**harmonî kirin** *l/ngh* afaroz etmek
**harmonîkirî** *rd* afaroz edilmiş olan
**harmûg** *m* tarlanın veya ekili toprağın ıslanıp suyu derinliğine alıp ekime hazır hale gelmesi
**harp** *m* harp, arp (yaylı bir çalgı)
**hars** *m* kahpe
**harsîtî** *m* kahpelik
**harsim** *n* koruk
**harûdîn** *rd* kudurgan
**harûdînî** *m* kudurganlık
**harûk** *m* bir tür çarık
**has** *bnr* his
**hasekî** *m* haseki
**hasil (I)** *m* ürün ~ **di Misûlê re derbas bû** geçti Bor'un pazarı sür eşeğini Niğde'ye (veya geçti Bor'un pazarı) ~ **giha Misûl** geçti Bor'un pazarı sür eşeğini Niğde'ye (veya geçti Bor'un pazarı)
**hasil (II)** *m* **1.** kıvam, koyuluk **2.** kıvam (iyice karıştırıp kıvamına getirme)
**hasil (III)** *rd* hâsıl (olan, ortaya çıkan, görünen)
**hasil (IV)** *m* sepi
**hasila** *m* hâsıla (elde edilen sonuç)
**hasilandin** *m* mecbur etme
**hasilandin** *l/gh* mecbur etmek
**hasilbûn (I)** *m* **1.** kıvamını bulma, kıvamına gelme **2.** yoğrulup kıvamına gelme
**hasilbûn (II)** *m* hâsıl olma
**hasil bûn (I)** *l/ngh* **1.** kıvamını bulmak, kıvamına gelmek **2.** yoğrulup kıvamına gelmek
**hasil bûn (II)** *l/ngh* hâsıl olmak, husul bulmak
**hasilbûyîn (I)** *m* **1.** kıvamını bulma, kıvamına geliş **2.** yoğrulup kıvamma gelme
**hasilbûyîn (II)** *m* hâsıl oluş
**hasilî kelam** *h* hâsılı kelam, sözün kısası
**hasilîn** *m* mecbur olma
**hasilîn** *l/ngh* mecbur olmak
**hasilker** *nd/nt* sepici
**hasilkerî** *m* sepicilik
**hasilkirin (I)** *m* **1.** kıvamına getirme, tavlama **2.** yoğurup kıvamına getirme
**hasilkirin (II)** *m* sepileme
**hasil kirin (I)** *l/gh* **1.** kıvamına getirmek, tavlamak **2.** yoğurup kıvamına getirmek * **hevîr hasil kirin** hamuru kıvamına getirdi
**hasil kirin (II)** *l/gh* sepilemek
**hasilkirî (I)** *rd* **1.** kıvamında, kıvamına getirilmiş olan **2.** yoğrulup kıvamına getirilmiş olan
**hasilkirî (II)** *rd* sepili
**hasilxane** *m* tabakhane
**hastû** *bnr* hestî
**haş (I)** *bnr* haj
**haş (II)** *rd* boş * **keda min çû haş e** emeğim boşa gitti
**haşa** *b* hâşâ ~ **Xwedê jî nedîtin** dünya yüzü görmemek (kapalı bir yerde sürekli kalmak)
**haşaş** *rd* mağrur
**haşbûn** *bnr* aş bûn
**haş bûn** *bnr* aş bûn
**haşehaş** *rd* mahşeri kalabalık ~ **haşehaş** mahşeri kalabalık olmak
**haşhaş** *bo/nt* haşhaş (Papaver somniferum)
**haşhaşîn** *rd* haşhaş içicilerden olan
**haşibandin** *m* pörsüme
**haşibandin** *l/gh* pörsümek
**haşibîn** *m* pörsünme
**haşibîn** *l/ngh* pörsünmek
**haşil** *nd* haşıl (unlu veya çirişli sıvı)
**haşilkirin** *m* haşılama
**haşil kirin** *l/gh* haşılamak

**haşî** *m* çıkma (bir kitabın kenarlarına yazılan yazı)
**haşkirin** *m* **1.** barıştırma **2.** susturma, yatıştırma (ağlayan çocuklar için) **3.** teskin etme, yatıştırma, sakinleştirme **4.** avutma (oyalama) **5.** gönlünü alma, ikna etme, susturma **6.** *mec* söndürme (tutku ve duygular için; etkisiz duruma getirme)
**haş kirin** *l/gh* **1.** barıştırmak **2.** susturmak, yatıştırmak (ağlayan çocuklar için) **3.** teskin etmek, yatıştırmak, sakinleştirmek **4.** avutmak (oyalamak) * **me bi zor û heft bela zarok haş kir** çocuğu zor bela avuttuk **5.** gönlünü almak, ikna etmek, susturmak **6.** *mec* söndürmek (tutku ve duygular için; yatıştırmak, etkisiz duruma getirmek)
**haştbûn** *m* **1.** barışma **2.** yatışma, sakinleşme (çocukların ağlamalarını kesme) **3.** susma (yatışma) **4.** ikna olma, susma **5.** sönme (duygular için; dinme, yatışma)
**haşt bûn** *l/ngh* **1.** barışmak **2.** yatışmak, sakinleşmek (çocukların ağlamalarını kesmek) **3.** susmak (yatışmak) * **zarok haşt bûn** çocuklar sustu **4.** ikna olmak, susmak **5.** sönmek (duygular için; dinmek, yatışmak)
**haştî** *m* barış
**haştkirin** *m* **1.** barıştırma **2.** susturma, yatıştırma (ağlayan çocuklar için) **3.** teskin etme, yatıştırma, sakinleştirme **4.** avutma (oyalama) **5.** gönlünü alma, ikna etme, susturma **6.** *mec* söndürme (tutku ve duygular için; etkisiz duruma getirme)
**haşt kirin** *l/gh* **1.** barıştırmak **2.** susturmak, yatıştırmak (ağlayan çocuklar için) **3.** teskin etmek, yatıştırmak, sakinleştirmek **4.** avutmak (oyalamak) * **me bi zor û heft bela zarok haşt kir** çocuğu zor bela avuttuk **5.** gönlünü almak, ikna etmek, susturmak **6.** *mec* söndürmek (tutku ve duygular için; yatıştırmak, etkisiz duruma getirmek)
**hatçû** *m* gelgit (boşuna gidip gelme)
**hateçûn** *m* trafik, gidiş geliş,
**hatif** *h* gaipten
**hatin (I)** *m* **1.** gelir (bir kimseye veya topluluga belli zamanlarda, belli yerlerden gelen para, varidat) **2.** gelir (bir ekonomik birimin belli bir süre içinde kazandığı para vb., varidat, irat)
**hatin (II)** *m* **1.** gelme, geliş **2.** gelme (geriye dönme) **3.** gelme (oturmaya, ziyarete gitme) **4.** gelme (varma, ulaşma) **5.** gelme (varlığını sürdürme, intikal etme) **6.** gelme (ortaya çıkma, doğma) **7.** gelme (belli bir süre dolma veya belli bir zamana ulaşma) **8.** gelme (...kadar olma) **9.** gelme (izleme, takip etme) **10.** gelme (bir yerden alınıp bir yere ulaştırılma) **11.** gelme (katılma, eklenme) **12.** gelme (daha önce üzerinde durulmuş olan konuya tekrar dönme) **13.** gelme (bir şeye sonradan inanma, hak verme, kabul etme) **14.** gelme (kazanılma, sağlanılma) **15.** gelme (uyma) **16.** gelme (olma, -e uğrama) **17.** gelme (akma) **18.** gelme (düşme, rast gelme) **19.** gelme (görünme, sanılma) **20.** gelme (mal olma) **21.** gelme (biriyle birlikte gitme) **22.** gelme (zamanı gösteren sözlerle birlikte; başlama, ulaşma) **23.** bitme (bitki, tüy, saç gibi şeyler için çıkıp yetişme) **24.** yağma (yağmur, kar, dolu için) **25.** akma **26.** olma, olgunlaşma **28.** düşme (fiyat düşürme) **29.** iyileşme, kabuk bağlama (yaranın kabuk bağlanıp iyileşmesi) **30.** gelme (yardımcı fiil olara; ihtiyaç anlatan deyimler kurar) **31.** gelme (sıralama gösteren kelimelerle ve sıralama sayı sıfatı ile; herhangi bir sırada bulunma)
**hatin** *l/ngh* **1.** gelmek * **ez hatim malê tu ne li wir bûyî** Eve geldim sen yoktun **2.** gelmek (geriye dönmek) * **min ew ji serê kuçeyê girt û hatim** onu sokağın başından aldım geldim **3.** gelmek (oturmaya, ziyarete gitmek) * **do êvarê mala apê min hatin mala me** dün akşam amcamlar bize geldi **4.** gelmek (varmak, ulaşmak) * **em hatin dawiya dersan** derslerin sonuna geldik * **birûske hat** telgraf geldi **5.** gelmek (varlığını sürdürmek, intikal etmek) * **ji serdemên berê gelek berhem heta roja me hatine** eski çağlardan birçok eser günümüze kadar gelmiştir **6.** gelmek (ortaya çıkmak, doğmak) * **hate dinyayê** dünyaya geldi **7.** gelmek (belli bir süre dolmak veya belli bir zamana ulaşmak) * **roj dihate esrê** gün ikindiye geliyordu **8.** gelmek (...kadar olmak) * **telê wê ancax dihate girmilka min** boyu ancak omuzuma geliyordu **9.** gelmek (izlemek, takip etmek) * **zarok ji par re dihatin** çocuklar arkadan geliyorlardı **10.** gelmek (bir yerden alınıp bir yere ulaştırılmak) * **qehwe ji Şamê tê** kahve Şamdan geliyor **11.** gelmek (katılmak, eklenmek) * **qertaf tên paşiya peyvan** ekler kelimelerin sonuna gelir **12.** gelmek (daha önce üzerinde durulmuş olan konuya tekrar dönmek) * **em gotinê li vir qut bikin, ji nû ve em bên ser mijara xwe** sözü burada kesip yeniden konumuza gelelim **13.** gelmek (bir şeye sonradan inanmak, hak vermek, kabul etmek) * **hûn hatin ser gotina min?** dediğime geldiniz mi? **14.** gelmek (kazanılmak, sağlanılmak) * **ji dukanê pereyekî baş ji wan re tê** dükkandan onlara güzel para geliyor **15.** gelmek (uymak) * **ez pê bawer im ku dê ev kinc ji te re biçûk bê** bu elbisenin sana küçük geleceğine eminim **16.** gelmek (olmak, -e uğramak) * **belayek hate serê me qet mepirse** başımıza bir belâ geldi, hiç sorma **17.** gelmek (akmak) * **av ji henefê nayê** musluktan su gelmiyor

**18.** gelmek (düşmek, rast gelmek) * **ronî nayê vir** buraya ışık gelmiyor **19.** gelmek (görünmek, sanılmak) * **ji were wekî vir be tê** size yalan gibi geliyor **20.** gelmek (mal olmak) * **heba qedehan bi du milyonî hat** bardaklarım tanesi iki milyona geldi **21.** gelmek (biriyle birlikte gitmek) * **ez diçim malê tu bi min re têyî?** ben eve gidiyorum, benimle gelir misin? **22.** gelmek (zamanı gösteren sözlerle birlikte; başlamak, ulaşmak) * **gava wexta wê bê ez dê bibêjim** zamanı gelirse söylerim **23.** bitmek (bitki, tüy, saç gibi şeyler için çıkıp yetişmek) * **porê wê pir zû hat** saçları çok çabuk bitti * **tovê titûnê hat** tütün tohumu yeşerdi **24.** yağmak (yağmur, kar, dolu için) * **baran dihat** yağmur yağıyordu **25.** akmak * **pozê wê hat** burnu aktı **26.** olmak, olgunlaşmak * **tirî dereng tê** üzüm geç olgunlaşır **27.** uzamak * **porê min hatiye** saçım uzamış **28.** düşmek (fıyat düşürmek) * **hate heta ser pênc milyonî** beş milyona kadar düştü **29.** iyileşmek, kabuk bağlamak (yaranın kabuk bağlanıp iyileşmesi) **30.** gelmek (yardımcı fiil olarak; ihtiyaç anlatan deyimler kurar) * **xewa (yekî) hatin** uykusu gelmek **31.** -ılmak, ,ilmek (edilgen fiillerin çekilmesinde yardımcı fiil olarak kullanılır ve başa gelir) * **keçik hatiye xwestin** kız istenilmiş **32.** gelmek (birleşik fiil yapar) * **hatin hiş** akla gelmek **33.** gelmek (sıralama gösteren kelimelerle ve sıralama sayı sıfatı ile; herhangi bir sırada bulunmak) * **kesê ku di serî de tê** başta gelen kişi ~ **(yekê)** (birini) istemeye gelmek ~ **(yekî)** (birinin) üzerine gelmek **(...)** ~ **(yekî)** yoklamak (ara sıra etkisini göstermek) * **li gorî ku ez derman jî dixwim, dîsa carinan sanco tên min** ilaç aldığım halde sancılar yine beni yokluyor ~**afirê Gayê Kilo** *argo* yola gelmek ~ **agir** misafir gibi oturmak (bulunduğu yerde her an ayrılacağı gibi oturmak) ~ **agirekî** ateş almaya mı geldin?, acelen ne? ~ **aqilê (yekî)** aklına gelmek (anımsamak, hatırlamak) ~ **ba dilê (yekî)** üzerine almak ~ **ba (cem an jî nik) hev 1)** bir araya gelmek, buluşmak **2)** birleşilmek ~ **bar** (at) gem almak ~ **bendê** bağlanılmak ~ **ber (yekî)** ayağına gelmek * **qismetê me hate ber me** kısmetimiz ayağımıza geldi ~ **ber çav 1)** göze görünmek (var olmadığı halde varmış gibi görünmek) **2)** canlanmak ~ **ber çavê (yekî) 1)** gözünün önünden geçmek, gözünün önüne gelmek **2)** canlanmak * **ew rojên berê dîsa hatin ber çavê min** o günler gözümün önün de tekrar canlandı ~ **ber destê (yekî)** eline düşmek (birine muhtaç olmak) ~ **ber ga** boğayla çiftleşecek duruma gelmek ~ **ber kel** dişi sığır çiftleşecek duruma gelmek ~ **ber kîloyê** ağır çekmek ~ **ber mal û mêran** (kız) evlenme çağına gelmek ~ **ber mirinê** ölümün kıyısına gelmek ~ **ber qedandinê** kolaylanmak ~ **berdan** boş düşmek (şeriat hükümlerine göre kocasından ayrılmak) ~ **bilêvkirin** telâfuz edilmek ~ **bîra (yekî) 1)** aklına düşmek, aklına gelmek, anımsamak, hatırlamak, hatırına gelmek **2)** bulmak, hatırlamak * **min kir nekir navê wî nehate bîra min** bir türlü admı bulamadım ~ **cem** (an jî **nik) hev 1)** bir araya gelmek, buluşmak **2)** birleşilmek ~ **cih** yerine gelmek (yapılmak, olmak) * **daxwaza we hate cih** isteğiniz yerine geldi ~ **coşê 1)** coşmak, heyecana gelmek **2)** galeyana gelmek ~ **coş û xiroşê 1)** heyecana gelmek **2)** galeyana gelmek ~ **çavên (yekî)** gözlerinden öpmek ~ **çaxê xwarinê** olgunlaşmak (meyve ve sebze için) ~ **danan** sağmaya gelmek (hayvan) ~ **danê** serilip serpilmek (gelişmek, evlilik çağına gelmek) ~ **dek û dolaban** oyuna gelmek * **nebî hûn bên dek û dolaban** bu oyuna sakın gelmeyin ~ **dema taştiyan** kuşluk vakti olmak ~ **derpêşkirin 1)** sunulmak **2)** ileri sürülmek, ortaya atılmak, ortaya sürülmek ~ **dest 1)** elini öpmek **2)** ele gelmek (tutulabilmek) **3)** teslim olmak ~ **destê (yekî) 1)** elini öpmek, ellerinden öpmek **2)** eline geçmek * **pere hate destê wî** eline para geçti ~ **destê hev** (birbirinin) ellerinin öpmek ~ **dil** içine sinmek, kafasına yatmak ~ **dilê (yekî)** üzerine almak, alınmak, oluşmak * **bila tiştekî wisa nehata dilê te** öyle bir şey sana oluşmamalıydı ~ **dinyayê** dünyaya gelmek (doğmak) ~ **diyarê (yekî) 1)** seyrine gelmek, tamaşasına gelmek **2)** görüşürüz, seni görürüm ~ **diyarê hev** görüşmek (görüşürüz anlamında bir deyim) ~ **diyarê qûna hev** *argo* görüşürüz ~ **eceleyê** aceleye gelmek ~ **emanê** amana gelmek ~ **ew** ~ **e** geliş geliş o geliş ~ **fehmkirin** (an jî **fêmkirin) 1)** anlaşılmak **2)** fark olunmak (anlaşılmak) ~ **fesilandin** fark olunmak (seçilip ayırt edilmek) ~ **ga** boğasamak * **çêlek hatiye ga** inek boğasamış ~ **girtin 1)** kapanmak **2)** tatil olmak (ara vermek, kapanmak) **3)** yakalanmak, tutuklanmak ~ **gon** çiftleşmek dönemi gelmek ~ **gotin 1)** söylenilmek **2)** telâfuz edilmek ~ **guhê (yekî)** kulağına çalınmak, kulağına çarpmak * **gotinên di wî hatin guhê min** lâfları kulağıma çarptı ~ **hafa (yekî) 1)** seyrine gelmek **2)** görürüm seni ~ **halê (...)** ...hâline gelmek * **me çi tehdeyî dîtin ku heta karên me bên vî halî** işler bu hale gelene kadar neler çektik ~ **hawara (yekî)** imdata (veya imdatına) yetişmek ~ **hedayê** hidayete ermek ~ **hemberî hev 1)** karşıkarşıya gelmek **2)** yüz yüze gelmek (bir araya gelmek) ~ **hemdê xwe 1)** kendine gelmek **2)** ayıkmak, ayılmak

3) kıvamına gelmek ~ **hewlê** kemale gelmek ~ **himatê** meydana gelmek (ortaya çıkmak) ~ **hişê (yekî)** aklına düşmek, aklına gelmek, hatırına gelmek (anımsamak, hatırlamak) ~ **hîzayê** hizaya gelmek ~ **hundirû** içeri girmek, içeriye adım atmak ~ **îdaniya (yekî)** bayramlaşmasına gelmek ~ **îdaniyê** bayramlaşmaya gelmek ~ **îmanê 1)** imana gelmek (Müslümanlığı kabul etmek **2)** imana gelmek (en sonunda doğruyu söylemek **3)** imana gelmek (sonradan bir şeyi kabul edip uymak) ~ **însafê** insafa gelmek ~ **ji newalê bûn xwediyê malê** dağdaki gelip bakdakini kovmak ~ **ji bo cehê (an jî rehê) simbêl jî li ser kirin** Dimyata pirince giderken evdeki bulgurdan olmak ~ **kirin 1)** yapılmak, edilmek * **alîkarî bi yekî hate kirin** birine yardım edildi **2)** kılınmak, yapılmak * **li camiyê nimêj tê kirin** camide namaz kılınır ~ **ku dîn bûn** nerdeyse delirmek ~ **ku (yek) xwarin 1)** nerdeyse birini öldürmek **2)** (birine) aşırı sevgi gösterisinde bulunmak ~ **ku ziwa teqîn** patlamak, çıldırmak ~ **maneya (tiştekî)** anlamına gelmek ~ **meşkekî** kendini büyük göstermeyeçalışanlara denir (özelikle kadınlar arasında) ~ **mêracê** vücuda gelmek ~ **milan** ele gelmek (bebek için; kucağa alınabilecek kadar büyümüş olmak) ~ **milê (yekî)** gücü yetmek ~ **nava (wan)** arasına (veya aralarına) karışmak ~ **nik hev 1)** bir araya gelmek, buluşmak **2)** birleşilmek ~ **pê** oluşmak, gerçekleşmek ~ **pêş çavê (yekî)** gözünün önüne gelmek ~ **pêşber** karşısına çıkmak ~ **pêşberî hev 1)** karşıkarşıya gelmek **2)** yüz yüze gelmek (bir araya gelmek) ~ **pêşiya (yekî) 1)** karşısına çıkmak **2)** (birini) karşılamaya gelmek ~ **pêşiyê** karşılamaya gelmek ~ **pêşkêş kirin** sunulmak, takdim edilmek (veya olunmak) ~ **qedimandin** sunulmak, takdim edilmek (veya olunmak) ~ **qeweta (yekî)** gücü yetmek ~ **rastê** (an jî **himatê**) meydana gelmek (ortaya çıkmak) * **ev qewxe ji ber çêrekê hate rastê** bu kavga bir küfür yüzünden meydana geldi ~ **rayê** yola gelmek, çekiye gelmek ~ **rê 1)** yola gelmek **2)** tava gelmek ~ **rû hev 1)** yanyana gelmek **2)** yüz yüze gelmek (bir araya gelmek) ~ **rûyê (yekî)** lâf işitmek * **ji diya wî gotin hatin rûyê wî** annesinden lâf işitti ~ **rûyê hev** öpüşmek (birbirinin yanağından öpülmek) ~ **salên xwe** yaşı bitirmek (öngörülen yaş sınırına varmak) ~ **sehkirin 1)** anlaşılmak **2)** fark olunmak (anlaşılmak) ~ **ser (tiştekî) 1)** (bir şeyin) başına geçmek, geçmek (görev almak) * **ji nû ve hate ser saziyê** tekrardan kurumun başına geçti * **hatin ser desthilatiyê** iktidara geçmek **2)** fiyat artmak, binmek * **ji sedî deh hate ser mazotê** mazota yüzde on bindi **3)** binmek **4)** konmak * **hate ser serweta hazir** hazır servete kondu ~ **ser bi serê** kıvamlanmak, meyanesi gelmek, kıvamına gelmek ~ **ser dabaşa xwe** asıl meseleye gelmek ~ **ser dabaşê** sadete gelmek * **ev gotinên tewşik in, em bên ser dabaşa xwe** bunlar boş lâflar, sadede gelelim ~ **ser darê edebê** edeplenmek ~ **ser dînê îslamê** islâmiyeti benimsemek (veya kabul etmek) ~ **ser gotina (yekî)** (birinin) sözüne gelmek, (birinin) dediğine gelmek ~ **ser hemdê xwe 1)** kendine gelmek **2)** ayıkmak, ayılmak, kendine gelmek (aklı başına gelmek) ~ **ser hev 1)** bir araya gelmek **2)** toplanmak * **gundî hatin ser hev** köylüler toplandı ~ **ser hişê xwe 1)** kendine gelmek **2)** ayıkmak, ayılmak, kendine gelmek (aklı başına gelmek) ~ **ser kar** sandıktan çıkmak (seçimle iş başına gelmek) ~ **ser kewna berê** yerine gelmek (eski durumuna gelmek) * **siheta min hate ser kewna berê** sağlığım yerine geldi ~ **ser kewna xwe** eski durumuna gelmek ~ **ser kurm û kirasê (yekî)** ayak uydurmak (kendi gidiş ve davranışını başkasınınkine benzetmek) ~ **ser loqa hazir** hazıra konmak ~ **ser mala hazir** hazır eve konmak ~ **ser malê hazir** hazıra konmak ~ **ser rêça xwe** izine dönmek ~ **ser riya heqiyê 1)** hak yoluna gelmek **2)** ayağı (veya ayakları) suya ermek ~ **ser xwe** kendine gelmek, iyileşmek, gücünü tekraradan kazanmak ~ **ser ziman 1)** dille gelmek **2)** ağız alışkanlığı olmak ~ **ser zimanê (yekî)** dilinin ucuna gelmek, dudağının ucuna gelmek * **hate ser zimanê min ku ez bibêjim mêrik miriye, lê min gotina xwe daqurtand** adamın öldüğünü demek, dilimin ucuna geldi, ama kendimi tuttum ~ **serê 1)** üstüne çıkmak **2)** meseleye gelmek **3)** artmak (değeri yükselmek) * **pere hatiye ser mal?** malın değeri artmışmı? ~ **serê (yekî) 1)** başına gelmek (kötü bir durumla karşılaşmak) * **qet tiştekî wiha hate serê te?** hiç böyle bir şey başına geldi mi? **2)** başından geçmek * **ev nexweşîn hatibû serê min jî** bu hastalık benim de başımdan geçti **3)** başına gelmek (beklenmedik, şaşırtıcı bir olay veya durumla karşılaşmak) **(tiştek)** ~ **serê (yekî)** (birine bir) hâl olmak ~ **serî** başa gelmek * **tiştên ku hatine serî ez dixwazim ji te re vebêjim** başıma gelenleri sana anlatmak istiyorum ~ **şûna xwe** izine dönmek ~ **teqdîmkirin** takdim edilmek (veya olunmak), sunulmak ~ **tevîhev kirin 1)** öteberileri hazırlamak, dink yapmak **2)** (birbirine) karıştırmak, kardırmak ~ **û çûn** (an jî **çûyîn**) **1)** geliş gidiş **2)** gelir gider ~ **û çûyîn hev negirtin** *bz* açık vermek (geliri gideri karşılamamak) ~ **û lêçûn** gelir gider ~ **vegotin 1)** anlatılmak **1)** ortaya sürülmek ~ **wateya**

bir (veya ikide birde) ~ **tu (yekî) didî xeberdanê hezar kul û derdên xwe dibêje** bir dokun bin ah işit (dinle) kâse-i fağfurdan ~ **wisa** (an jî **wilo**) 1) öylesine, şöylesine * **hema wilo seriyek lê da** öylesine baş vurdu * **hema wisa ez hatibûm** öylesine gelmiştim 2) aşırılığa kaçmadan ~ **wisa çavek avêtinê** şöyle bir göz atmak ~ **wisa çavek lê gerandin** şöyle bir bakmak (veya göz atmak) ~ **wisa hatin hişê (yekî)** aklına esmek ~ **xwe xelas kirin** *mec* ayakkabısız kaçmak ~ **yek jê** (an jî **ji wan**) herhangi biri * **hema yek ji wan bila bê** herhangi birisi gelsin ~ **yek jî** her hangi birisi ~ **yekser 1)** düpedüz **2)** ceffelkalem, bir çırpıda

**hema (II)** *h* **1.** hemen, aşağı yukarı, yalnız * **ez hema wan çaxan hatibûm** ben hemen o sıralar gelmiştim **2.** hemen, hemencecik, çarçabuk, derhal **3.** hop (birden veya hıla yapılan işleri anlatır) **4.** şöyle (aşağı yukarı, o yolda) **5.** ha bire * **karê wê ew bû hema masî sor dikirin** ha bire balık kızartıyordu **6.** öylesine **8.** yeter ki ~ **a niha** şimdiden tezi yok ~ **got û ...** hop (birden veya hızla yapılan işleri anlatır * **hema got gur û xwe avête avê** hop diye kendini suya attı ~ ~ **1)** hemen hemen (nerede ise, az zaman sonra) * **hema hema maye ku dinya tarî bibe** hemen hemen ortalık kararacak **2)** hemen hemen (aşağı yukarı, tam değilse bile ona yakın) * **hema hema bûye du sal ku nehatiye vir** hemen hemen iki yıl oldu buraya gelmemiş **3)** eli kulağında ~ **hişk bi berstûka (yekî) girtin** hemen yakasına yapışmak, çalyaka etmek ~ **mabû** handiyse, hemen hemen, neredeyse ~ **pê re** bir çırpıda, çabucak ~ **pê re pê re** hemen, vakit geçirmeden, yemeden içmeden * **hema pê re pere gotinên min çûye gihandiyê** yemeden içmeden lafımı gidip yetiştirmiş ~ **rasterast** *rd* birden, yekten ~ **sond xwarin** hemen yemini basmak ~ **yek carê** *rd* birden, yekten ~ **zûzûka** çarçabuk

**hema hema** *h* hemen hemen, neredeyse, dara dar, darı darına, uç uca * **hema hema mabû ku bikeve** neredeyse düşecekti

**hema jixwe** *h* öylesine * **hema jixwe ez hatibûm** öylesine gelmiştim

**hemakî** *h* çarçabuk, derhal, hemencecik

**hemal** *n* hamal, yükçü ~ **û memal** hamal cemal

**hemaliye** *m* hamaliye

**hemalî (I)** *m* **1.** hamallık, yükçülük **2.** hamallık (kaba ve ağır işi) ~**ya (karekî) kirin** (bir işin) hamallığını etmek (veya yapmak)

**hemalî (II)** *rd* yöndeş

**hemaltî** *m* hamallık, yükçülük

**hemam** *m* hamam, ısı dam ~ **kirin** yıkamak, banyo etmek ~**a jinan** kadınlar hamamı * **eynî hemam e** fırın gibi (çok sıcak yer

**hema mabû** *h* hemen hemen, neredeyse, handiyse * **hema mabû bikeve** neredeyse düşecekti

**hemamkirî** *rd* banyo yapmış olan

**hemamok** *m* hamamlık, yunak, banyo

**hemamvan** *nd/nt* hamamcı

**hemamvanî** *m* **1.** hamamcılık **2.** *rd* hamama yıkamaya giden

**heman (I)** *rd* **1.** aynı, özdeş **2.** *nd* tıpkı **(bi)** ~ **devî bûn** aynı ağzı kullanmak

**heman (II)** *h* **1.** hemen, hemencecik, çabucak **2.** acilen ~ ~ hemen hemen (aşağı yukarı, tam değilse bile ona yakın) * **hemen hemen bûye du sal ku nehatiye vir** hemen hemen iki yıl oldu buraya gelmemiş

**hemançapî** *m* tıpkıbasım, faksimile

**hemandin** *m* **1.** koruma, muhafaza etme **2.** kollama **3.** muhafazaya alma, etrafını çevirme

**hemandin** *l/gh* **1.** korumak, muhafaza etmek **2.** kollamak * **ên ku wî dihemînin em qenc dizanin** onu kollayanları biz gayet iyi biliyoruz **3.** muhafazaya almak, etrafını çevirmek

**hemandî** *rd* **1.** korunmuş **2.** kollanmış **3.** muhafazalı

**hemanî** *m* özdeşlik

**hemasa** *nd* her zaman, daîma

**hemast** *rd* aynı düzeyde olan

**hematî** *m* hemati

**hematît** *jeo/m* hematit, kan taşı

**hematolog** *nd/nt* hematolog, kan bilimci

**hematolojî** *m* hematoloji, kan bilimi

**hemawaz** *rd* **1.** hemavaz (aynı sesi çıkaran) **2.** hemavaz (birbiriyle uyuşan)

**hema wisa** *h* şöylesine * **hema wisa seriyek lê da** öylesine baş vurdu

**hemaxûş** *rd* kucakdaş

**hemaxûşî** *m* kucakdaşlık

**hemayîl** *m* hamail

**hemayûn** *mzk/m* hümayun

**hembajar** *rd* şehirdaş

**hembajarî** *nd/nt* hemşehri

**hembajarîtî** *m* hemşehrilik

**hemban** *bnr* heban

**hembawer** *rd* inançdaş

**hembawerî** *m* inançdaşlık

**hembaz (I)** *nd/nt* **1.** arkadaş **2.** ortak (birlikte oynayan, hem+baz)

**hembaz (II)** *m* örnek, misal

**hembazî** *m* **1.** arkadaşlık **2.** ortaklık

**hembejn** *rd* boydaş

**hembejnî** *m* boydaşlık

**hembelaz** *bot/m* bir tür yaban armudu

**Hembelî** *nd* **1.** Hambelî (İslâmlıkta ehli sünnet denilen dört mezhebinden biri) **2.** *rd* Ḫembelî (bu mezhepten olan kimse)

**hembengî** *rd/nd* aşıkdaş

**hember** *nd* **1.** karşı, ön (bir şeyin, bir yerin, bir

kimsenin önü, esas tutulan yüzünün ilerisi) * **li hemberî min mesekine** karşımda durma * **mala li hember** öndeki ev **2.** karşı (yol, ırmak vb. nin öbür kıyısı veya yanı) **3.** karşı (bulunan yere göre önde, ileride olan) * **keçên taxa hember** karşı mahallenin kızları **4.** karşı, mukabil (karşılık olarak) * **li hemberî vê gotinê dikare çi bê gotin?** bu söze karşı ne denir? **5.** *h* karşı (yüzünü bir yöne doğru **6.** karşılık (bir dildeki bir sözü başka bir dilde aynı anlamda karşılayan söz) **7.** *rd* karşı, karşıt, muhalif, zıt * **partiya hember** karşı parti çevirerek) **8.** *nd/nt* hasım, karşıt **9.** *nd/nt* rakip, aleyhtar **10.** *rd* karşıt, muarız **11.** *rd* karşı (bir şeyin karşısında bulunan) **12.** denk, eş **li ~î (yekî) rabûn** (birine) karşı gelmek
**hemberan** *nd/nt* karşıt
**hemberanî** *m* karşıtlık
**hemberanîkirin** *m* karşılaştırma
**hemberanî kirin** *l/gh* karşılaştırmak
**hemberî** *m* **1.** karşılık **2.** karşıtlık, muhaliflik **3.** rakiplik, aleyhtarlık **4.** rakabet, yarışma **5.** karşılaşma **6.** karşılaştırma, kıyas ~ **hev kirin** karşılaştırmak, mukayese etmek ~ **jê kirin** (birini) rakip görmek ~ **kirin 1)** rekabet yapmak **2)** *mec* yarış etmek ~**ya (yekî) kirin 1)** (biriyle) yarışa kalkışmak **2)** -e özenmek
**hemberîdan** *m* misilleme, karşılık verme
**hemberî dan** *l/gh* misillemek, karşılık vermek
**hemberîhevkirin** *m* karşılaştırma, mukayese etme
**hemberî hev kirin** *l/bw* karşılaştırmak, mukayese etmek
**hemberîkirin** *m* özenme, özenilme
**hemberî kirin** *l/gh* özenmek, özenilmek
**hemberkirî** *rd* karşılaştırmalı, karşılaştırılmış
**hemberkirin** *m* denkleştirme, eş hale getirme
**hember kirin** *l/gh* denkleştirmek, eş hale getirmek
**hemberkî** *rd* rakipçe
**hembertî** *m* **1.** karşıtlık, muhaliflik **2.** hasımlık
**hembext** *rd* kaderdaş, kaderleri bir olan
**hembextî** *m* kader birliği
**hembêz** *m* **1.** kucak **2.** kucak (herhangi bir durumun veya şeyin sınırlarının arası, iç) **hev ~ kirin** kucaklaşmak **(yek) ~ kirin** kollarının arasına almak ~**a dê** ana kucağı
**hembêzkirin** *m* kucaklama, kucaklayış
**hembêz kirin** *l/gh* kucaklamak * **gava ew dît nedît xwe avête serê û ew hembêz kir** onu görür görmez üstüne atılıp onu kucakladı
**hembilindî** *erd/m* eş yükselti, izohips
**hembîr** *rd* düşündeş, hemfikir
**hembîrî** *m* düşündeşlik, hemfikirlik
**hembîze** *rd* karındaş
**hemcefa** *rd* cefadaş
**hemcelep** *rd* türdeş
**hemcelepî** *m* türdeşlik
**hemcins** *nd/rd* hemcins, türdeş
**hemcinsbaz** *nd/nt* eşcinsel, homoseksüel
**hemcinsbazî** *m* eşcinsellik, homoseksüellik
**hemcinsî** *m* türdeşlik, hemcinslik
**hemcivak** *rd* toplumdaş
**hemcur** *rd* türdeş
**hemcure** *nd/rd* türdeş, hemcins
**hemcuretî** *m* türdeşlik
**hemcureyî** *m* türdeşlik, hemcinslik
**hemçax** *rd* **1.** çağdaş (aynı çağda yaşayan, muasır) **2.** çağdaş (bulunan çağın anlayışına, şartlarına uygun olan)
**hemçaxî** *m* çağdaşlık
**hemçaxîbûn** *m* çağdaşlaşma, muasırlaşma
**hemçaxî bûn** *l/ngh* çağdaşlaşmak, muasırlaşmak
**hemçaxîbûyîn** *m*çağdaşlaşma
**hemçaxîkirin** *m* çağdaşlaştırma
**hemçaxîkirin** *l/gh* çağdaşlaştırmak
**hemçerx** *rd* **1.** çağdaş (aynı çağda yaşayan, muasır) **2.** çağdaş (bulunan çağın anlayışına, şartlarına uygun olan)
**hemçerxî** *m* çağdaşlık
**hemçerxîbûn** *m* çağdaşlaşma, muasırlaşma
**hemçerxî bûn** *l/ngh* çağdaşlaşmak, muasırlaşmak
**hemçerxîbûyîn** *m* çağdaşlaşma
**hemçerxîkirin** *m* çağdaşlaştırma
**hemçerxî kirin** *l/gh* çağdaşlaştırmak
**hemçeşîd** *rd* türdeş
**hemçeşîdî** *m* türdeşlik
**hemçeşn** *rd* türdeş,
**hemçeşnî** *m* türdeşlik
**hemd** *m* **1.** hamt, Tanrıya şükretme **2.** istenç, irade * **ew bêhemd û emadê xwe dixebitin** istenç dışı çalışıyorlar * **derî hemdê min bû** iradem dışında oldu **3.** akış, cereyan * **em kar bihêlin bila bi hemdê xwe çêbibe** işi kendi cereyanına bırakalım **4.** *mec* kıvam (istenilen durumda olma) * **di hem de xwe de ye** kıvamında ~ **ji Xwedê re 1)** hamt olsun, Allah'a hamd olsun, Allaha (bin) şükür **2)** hele şükür * **hemd ji xwedê re tu îcar jî hatî** hele şükür gelebildin **bi ~ê xwe nahêle ku mîro (an jî morî) bikeve bin piyê wî** karınca ezmez (veya incitmez) ~**ê Xweda şikur** Allaha (bin) şükür ~ **û sena** çok şükür
**hemdem** *rd* **1.** çağdaş (aynı çağda yaşayan, muasır) **2.** çağdaş (bulunan çağın anlayışına, şartlarına uygun olan) **3.** arkadaş (sıkı sıkı arkadaş, aynı dönemin çocukları)
**hemdemî** *m* **1.** çağdaşlık **2.** *rd* eş zamanlı (aynı zamanda oluşan)
**hemdemîbûn** *m* çağdaşlaşma, muasırlaşma
**hemdemî bûn** *l/ngh* çağdaşlaşmak, muasırlaşmak
**hemdemîbûyîn** *m*çağdaşlaşma, muasırlaşma
**hemdemîkirin** *m*çağdaşlaştırma, muasırlaştırma

**hemdemî kirin** *l/gh* çağdaşlaştırmak, muasırlaştırmak
**hemdemîtî** *m* çağdaşlık
**hemdeng** *rz* û *nd/rd* eş sesli, sestaş, sesteş, homonim
**hemdengî** *rz/m* eş seslilik, sestaşlık, sesteşlik
**hemdengîtî** *m* eş seslilik
**hemderd** *rd* derttaş, dert ortağı, hemdert
**hemderdî** *nd/nt* derrtdaşlık, dert ortaklığı
**hemdest** *rd* **1.** el ele veren, müttefik **2.** güç ve kuvveti bir olan **3.** ortak **4.** yardımcı
**hemdestî** *rd* **1.** el ele verme, müttefiklik **2.** güç ve kuvveti bir olma **3.** ortaklık **4.** yardımcılık
**hemdibistanî** *nd* okuldaş
**hemdijmin** *nd/nt* muhasım, birbirine düşman olanların her biri
**hemdih** *rd* aynı köyden olan
**hemdil** *nd/nt* **1.** gönüldaş, duygudaş **2.** sevgili
**hemdilî** *m* gönüldaşlık, duygudaşlık
**hemdirûv** *rd* benzeş
**hemdirûvî** *m* benzeşlik
**hemdî** *rd* ihtiyarî, isteğe bağlı * **bêhemdî** gayri ihtiyarî
**hemdîn** *nd/nt* dindaş
**hemdînî** *m* dindaşlık
**hemdînî bûn** *l/ngh* dindaş olmak
**hemdkirin** *m* hamdetme
**hemd kirin** *l/gh* hamdetmek
**hemefser** *rd* taç arkadaşı
**hemejî** *sos/m* imece
**Hemel** *ast/m* Koç burcu
**hemen** *h* **1.** hemen, anında, derhal, şıp diye * **hemen fehm kir** şıp diye anlayıverdi **2.** bu günden tezi yok, vakit kaybetmeden **3.** alır almaz ~ ~ **1)** hemen hemen **2)** şöyle böyle
**hemerk** *rd* görevdeş
**hemerkî** *m* görevdeşlik
**hemet (I)** *m* barınak
**hemet (II)** destek, yardım
**hemet (III)** *m* baskı, tazyik
**hemetan** *m* destekleme
**hemetkirin** *m* baskı yapma, baskı uygulama
**hemet kirin** *l/gh* baskı yapmak, baskı uygulamak
**hemeyar** *n* hemayar, denk
**hemê** *m* mama (çocuk dilinde)
**hemên** *g* madem ~ **ku** madem ki, değil mi ki
**hemêt** *m* itina, özen
**hemêtî** *m* itinalık
**hemfikir** *rd* **1.** hemfikir, düşündeş **2.** oydaş
**hemfikirbûn** *m* hemfikir olma, uyuşma
**hemfikir bûn** *l/ngh* hemfikir olmak, uyuşmak
**hemfikirî** *m* hemfikirlik, düşündeşlik
**hemgav** *rd* birbirine ayak uyduran
**hemgel** *m* evren
**hemgelî** *rd* **1.** evrensel (evrele ilgili) **2.** evrensel (bütün insanlığı ilgilendiren, cihanşümul)
**hemgerm** *m* eş sıcak, izoterm
**hemgon** *rd* renkteş
**hemgund** *nd/nt* köydeş
**hemgundî** *m* köydeşlik
**hemhal** *rd* hemhal, haldaş (aynı durumda olan)
**hemhalî** *m* haldaşlık
**hemhest** *rd/nd* duygudaş
**hemhestî** *m* duygudaşlık
**hemhezir** *rd* hemfikir
**hemhezirî** *m* hemfikirlik
**hemhêl** *rd* yöndeş
**hemhidûd** *rd* sınırdaş
**hemhidûdî** *m* sınırdaşlık
**hemhizir** *rd* düşündeş, hemfikir
**hemhizirî** *m* düşündeşlik, hemfikirlik
**hemhîza** *rd* aynı düzeyde olan
**hemidandin** *m* **1.** koruma, muhafaza etme **2.** kollama **3.** muhafazaya alma, etrafını çevirme
**hemidandin** *l/gh* **1.** korumak, muhafaza etmek **2.** kollamak * **ên ku wî dihemînin em qenc dizanin** onu kollayanları biz gayet iyi biliyoruz **3.** muhafazaya almak, etrafını çevirmek
**hemidîn** *m* korunma
**hemidîn** *l/ngh* korunmak
**hemik** *bnr* hemû
**hemikandin** *m* **1.** yekinmesini sağlama **2.** gücünü de deneme
**hemikandin** *l/gh* **1.** yekinmesini sağlamak **2.** gücünü de denemek
**hemikîn** *m* **1.** yekinme, yeltenme **2.** gücünü denemek
**hemikîn** *l/ngh* **1.** yekinmek, yeltenmek **2.** gücünü denemek
**hemil** *bnr* heml
**hemilandin** *m* **1.** sindirme, sindiriş, hazmetme **2.** içine sindirme **3.** tahammül etme (bir olaya seyirci kalıp ses çıkarmama) **4.** barındırma
**hemilandin** *l/gh* **1.** sindirmek, hazmetmek **2.** içine sindirmek * **te çawa ev gotin hemilandine?** bu sözleri nasıl içine sindirmişsin? **3.** tahammül etmek (bir olaya seyirci kalıp ses çıkarmamak) **4.** barındırmak
**hemilîn** *m* **1.** sindirilme, sindiriliş, hazmedilme **2.** içine sindirilme **3.** tahammül edilme **4.** barınma, barınış
**hemilîn** *l/ngh* **1.** sindirilmek, hazmedilmek **2.** içine sindirilmek **3.** tahammül edilmek **4.** barınmak
**hemilk** *m* kırba (hastalığı)
**hemilkî** *rd* kırba hastalığına yakalanmış olan kimse
**hemilkîbûn** *m* kırba hastalığına yakalanma
**hemilkîbûn** *l/ngh* kırba hastalığına yakalanmak
**hemin** *g* **1.** madem **2.** *h* madem, hazir * **hemin**

tu diçî. wî jî bi xwe re bibe hazır gidiyorsun, onu da götür ~ **gotin hatiye serê** sırası gelmişken ~ **keysa me ketiyê** sırası gelmişken ~ **ku** mademki * **hemin ku hûn bawer nakin hûn bi xwe werin** mademki inanmıyorsunuz kendiniz gelin
**hemis** *nd* bir keçi türü
**hemitî** *rd* kolay
**hemiyet** *m* hamiyet
**hemî (I)** *bnr* hemû
**hemî (II)** *n* baltalık (bir köyün veya kimisenin odun ihtiyacını karşılamak için ayrılan ormanlık alan)
**hemîdeal** *nd/nt* ülküdaş
**hemîl** *rd* hamil (elinde taşıyan, üzerinde taşıyan)
**hemîle** *rd* hamile, gebe, yüklü ~ **bûn** hamile olmak ~ **hiştin** hamile bırakmak ~ **kirin** hamile etmek ~ **man** hamile kalmak
**hemîletî** *m* hamilelik, gebelik
**hemîn (I)** *bnr* hemin
**hemîn (II)** *m* **1.** korunma, muhafaza edilme **2.** kollanma **3.** muhafazaya alınma, etrafı çevirilme
**hemîn** *l/ngh* **1.** korunmak, muhafaza edilmek **2.** kollanmak **3.** muhafazaya alınmak, etrafı çevirilmek
**hemîne** *g* madem
**hemîş** *nd* yemiş
**hemîşe** *bnr* hemûçk
**hemjî** *rd* akran, yaşıt
**hemjîn** *rd* beraber yaşayan resmi olarak eş olmayanlar
**hemk (I)** *m* fırsat
**hemk (II)** *m* yekinme
**hemkar** *nd/nt* **1.** iş arkadaşı, koldaş kapı yoldaşı (aynı yerde veya görevlerde çalışanlardan her biri) **2.** partner **3.** meslektaş
**hemkarî** *m* **1.** iş arkadaşlığı, koldaşlık **2.** partnerlik **3.** meslektaşlık
**hemkase** *nd/nt* **1.** aynı kaseyi kullananlar, içtiktikleri ayrı gitmeyen **2.** kadeh arkadaşı, içki arkadaşı
**hemkasetî** *m* **1.** aynı kaseyi kullanma **2.** kadeh arkadaşlığı, içki arkadaşlığı
**hemkitêb** *rd* dindaş, aynı kitaba inanan
**hemkîş** *rd* dindaş
**hemkîşî** *m* dindaşlık
**hemkîtab** *rd* dindaş, aynı kitaba inanan
**hemkomel** *rd* toplumdaş
**hemkûf** *rd* deng, eş
**hemkûfî** *m* denglik, eş olma
**heml (I)** *bnr* meyl û heml
**heml (II)** *m* **1.** cenin, yük * **hemla te keç e?** yükün kız mı? **2.** gebelik **3.** *mec* taşıma ~**a (yekê)** karnındaki cenin ~**a xwe danîn** doğum yapmak, doğurmak, doğum yapmış olmak **(di)** ~**a xwe de gerandin** karnında taşımak ~**a xwe kurîn e** erkek çocuğa gebe
**heml (III)** *rd* sabır
**hemlayen** *rd* yöndeş
**hemle** *m* hamle, atılım, atak ~ **kirin** hamle etmek (veya yapmak)
**hemleker** *rd/nt* hamleci, atılımcı
**hemlekirin** *m* hamle yapma
**hemle kirin** *l/gh* hamle yapmak
**hemlfireh** *rd* sabırlı
**hemlik** *m* kırba (hastalığı)
**hemlikî** *rd* kırba hastalığına yakalanmış olan
**hemlikî bûn** *l/ngh* kırba hastalığına yakalanmak
**hemmalî** *rd* evdeş
**hemmane** *rz/rd* anlamdaş, eş anlamlı
**hemmanetî** *rz/m* anlamdaşlık, eş anlamlılık
**hemmaneyî** *rz/rd* eş anlamlı
**hemmengî** *nd/nt* ülküdaş
**hemmengîtî** *m* ülküdaşlık
**hemmeslek** *nd/nt* meslektaş
**hemmeslekî** *m* meslektaşlık
**hemmînak** *rd* örnekdaş
**hemnav** *rd* **1.** adaş **2.** *rz* sestaş, sesteş
**hemnavî** *m* adaşlık
**hemnefes** *rd* **1.** eş, arkadaş **2.** sıkı arkadaş
**hemnefest** *rd* candan dost
**hemnetewe** *rd* ulusdaş
**hemnetewetî** *m* ulusdaşlık
**hemneyar** *nd/nt* düşmandaş, muhasım (birbirine düşman olanların her biri)
**hemneyarî** *m* düşmandaşlık, muhasımlık
**hemnifş** *rd* kuşaktaş
**hemnifşî** *m* kuşaktaşlık
**hemnimûne** *rd* örnekdaş, bir örnek
**hemnişîn** *rd* **1.** evdeş **2.** oturma arkadaşı
**hemnîgar** *rd* şekildeş
**hemnîgarî** *m* şekildeşlik
**hemnîjad** *nd/rd* ırktaş, soydaş
**hemnîjadî** *m* ırktaşlık, soydaşlık
**hemodiyalîz** *bj/m* hemodiyaliz
**hemofîl** *nd/rd* hemofil
**hemofîlî** *bj/m* hemofili
**hemoglobîn** *biy/m* hemoglobin
**hemol** *nd/nt* dindaş
**hemolî** *m* dindaşlık
**hemolîbûn** *m* dindaş olma
**hemolî bûn** *l/ngh* dindaş olmak
**hemolîtî** *m* dindaşlık
**hemoloto** bu deyimden geçer * **hemoloto dev ji paliyê berda xar bir coto** mayının iştahlı
**hempa** *nd/nt* **1.** ayaktaş **2.** arkadaş, refik **3.** omuzdaş, ayaktaş (daha çok iyi olmayan işlerde) **4.** denk, eşdeğer (uygun, nitelik bakımında eşit) * **ew ne hempayê we ye** o sizin denginiz olamaz **5.** taydaş, öğür, akran
**hempar** *rd/nd* paydaş
**hemparî** *m* paydaşlık
**hempartî** *rd* partidaş
**hempartîbûn** *m* partidaşlık
**hempartîtî** *m* partidaşlık

**hempatî** *m* 1. ayaktaşlık 2. arkadaşlık 3. omuzdaşlık, ayaktaşlık (daha çok iyi olmayan işlerde) 4. denklik, eşdeğerlik (uygun, nitelik bakımında eşitlik) 5. taydaşlık, akranlık
**hempaye** *rd* aynı rütbede, eşit
**hempejn** *rd/nd* duygudaş
**hempejnî** *m* duygudaşlık
**hempeyker** *rd* süratları aynı olan, simaları birbirine benzer
**hempeykerî** *m* süratları aynı olma, simaları birbirine benzeme
**hempeyman** *rd* bağlaşık, müttefik
**hempeymanî** *m* bağlaşıklık, müttefiklik
**hempeywir** *rd* görevdeş
**hempeywirî** *fizy/m* görevdeşlik
**hempişk** *rd* paydaş
**hempişkî** *m* 1. paydaşlık 2. paylaşma **~ya (...) kirin** (birinin herhangi bir şeyini) paylaşmak paylaşmak * **em hempişkiya êşa we dikin**
**hempişkî kirin** *l/gh* paylaşmak * **em hempişkiya kovana we dikin** acınızı paylaşıyoruz
**hempişt** *rd* birinin ardından doğan kimse
**hempîşe** *nd/nt* meslektaş
**hempîşetî** *m* meslektaşlık
**hemqal** *rd* birbiriyle muhabeti olanlar
**hemqedeh** *rd* içki arkadaşı
**hemqeder** *rd* kaderdaş, kaderleri bir olan
**hemqederî** *m* kader birliği
**hemqurm** *rz/rd* kökteş
**hemraman** *rd* 1. düşündeş, hemfikir 2. oydaş
**hemramanî** *m* düşündeşlik
**hemray** *rd* oydaş
**hemrayek** *rz/rd* kökteş
**hemraz** *nd/nt* sırdaş
**hemrazî** *m* sırdaşlık
**hemreh** *rd* ırktaş, soydaş
**hemreng** *rd* renkteş
**hemrengî** *bot* 1. renkteşlik 2. *m* renkteşlik
**hemrewş** *rd* haldaş, hemhal, aynı durumda olan
**hemrewşî** *m* haldaşlık
**hemrê** *nd/nt* 1. yoldaş (yol arkadaşı) 2. yoldaş (ortak bir görüşü benimseyenlerden her biri)
**hemrêje** *rd* orandaş
**hemrêtî** *m* yoldaşlık
**hemrêz** *rd* sıradaş
**hemrik** *nd/nt* rakip
**hemrikî** *m* rakiplik
**hemroj** *rd* gündeş
**hemsa (I)** *rd* devamlı
**hemsa** *nd/nt* 1. komşu 2. *rd* komşu
**hemsal** *nd/nt* akran, yaşıt, öğür, taydaş
**hemsalî** *m* akranlık, yaşıtlık, taydaşlık
**hemsatî** *m* komşu
**hemse** *wj/m* hamse
**hemseng** *rd* denk (ağırlık bakımında eşit olan)
**hemser** *nd/nt* eş (kadın, erkek eşlerden her biri)
**hemsir** *nd/nt* sırdaş
**hemsirî** *m* sırdaşlık
**hemsî (I)** *nd/nt* 1. komşu 2. *rd* komşu
**hemsî (II)** *zo/m* hamsi (Engraulisencrasicholus)
**hemsînor** *rd* sınırdaş, hemhudut
**hemsînorî** *m* sınırdaşlık
**hemsîtî** *m* komşuluk
**hemsohbet** *nd/nt* sohbet arkadaşı
**hemşadî** *rd* mutluluk arkadaşı
**hemşahî** *rd* mutluluk arkadaşı
**hemşehrî** *nd/nt* 1. hemşehri 2. hemşeri, dost, ahbap
**hemşehrîtî** *m* hemşehrilik
**hemşekil** *rd* şekildeş
**hemşekilî** *m* şekildeşlik
**hemşêwe** *rd* 1. şekildeş 2. *kîm/fiz m* eş biçim 3. aynı, türdeş
**hemşêwetî** *m* 1. şekildeşlik 2. eş biçimlik 3. türdeşlik
**hemşiban** *rd* 1. benzeş 2. benzeşim
**hemşibanî** *m* benzeşlik
**hemşibîn** *rd* benzeş
**hemşibînî** *m* benzeşlik
**hemşîre** 1. hemşire (aynı memeden süt emmiş olan, kardeş) 2. hemşire (diplomalı hastabakıcı kadın)
**hemşîretî** *m* hemşirelik
**hemşîreyî** *m* hemşirelik
**hemta** *n* 1. eşit, denk, eş değer, denktaş, denkteş 2. çap (değer) * **ew jî hemtayê Yaşar Kemal e** o da Yaşar Kemal çapında biri 3. taydaş
**hemtanîşan** *rd* aynı nişana sahip
**hemtaraz** *m* denk, muvazene
**hemtarî** *rd* mahalleli
**hemtatî** *m* 1. eşitlik, denklik, eş değerlik, denktaşlık 2. taydaşlık
**hemtawan** *rd* suçtaş, suc ortağı
**hemtawanî** *m* suçtaşlık, suç ortaklığı
**hemtaxî** *rd* mahalleli
**hemtayî** *nd/rd* eş değer
**hemtayîtî** *m* eş değerlilik
**hemtebîet** *rd* huydaş, huyları aynı olan
**hemtel** *rd* boydaş
**hemtelî** *m* boydaşlık
**hemtemen** *rd* akran, yaşıt
**hemteraz** *rd* denk, muvazene
**hemteşe** *rd* 1. şekildeş 2. *m* eş biçim, izomorf
**hemteşetî** *m* 1. şekildeşlik 2. *kîm/fiz* eş biçimlilik, izomorfizim 3. *mat* eş biçimlilik, izomorfizim
**hemteşeyî** *kîm/fiz rd* eş biçimli, izomorfik
**hemteşîd** *nd/rd* türdeş, hemcins
**hemteşîdî** *m* türdeşlik, hemcinslik
**hemtirk** *m* kıyasıya dövme **~a (yekî) danê** kıyasıya dövmek, suyunu çıkarmak, **~a (yekî) danîn** Allah yarattı dememek
**hemtiş** *n* atik eşek sıpası
**hemtixûb** *rd* sınırdaş, hemhudut

**hemtixûbî** *m* sınırdaşlık
**hemtî** *m* nohut ve yarmadan yapılan çorbaya benzeyen bir sulu yemek
**hemû** *nd/h* **1.** hep, bütün, tüm (hiç biri dışta tutulmamak veya eksik olmamak üzere, (eksiksiz, tam) * **van karan hemû tu bike** bu işleri hep sen yap * **li bêhnekê hemû nan xwar** bir oturuşta bütün ekmeği yedi **2.** bütün (çok sayıdaki varlıkların ve nesnelerin hepsi) **3.** hep (daima, sürekli) * **hemû tu dikî** hep sen yapıyorsun **4.** hep, hepsi, tümü * **ez we hemûyan baş dibînim** hepinizi iyi görüyorum * **bi hemûyan re qelem heye** hepsinde kalem var ~ **bi devekî** hep bir ağızdan ~ **bi devekî bûn** ağızbirliği içinde olmak ~ **bi hev re** hep beraber, hep birden ~ **bûn bi devekî** hep bir ağız olmak ~ **çêlek (an jî mih) tên dotin hemû gotin nayên gotin** her söz söylenmez ~ **ezbet** bütün sülale, anası danası
**hemûçk** *c* **1.** cümlesi, hepsi **2.** *nd/h* hep, bütün, tüm (hiç biri dışta tutulmamak veya eksik olmamak üzere, eksiksiz, tam) * **van karan hemûçk tu bike** bu işleri hep sen ya **3.** bütün (çok sayıdaki varlıkların ve nesnelerin .hepsi)
**hemûkî** *rd* **1.** toplu (hep bir arada) * **peymangirêdana hemûkî** toplu sözleşme **2.** bütünsel, total **3.** *nd/nt* ortaklaşacı, kolektivist
**hemûkîbûn** *m* kolektifleşme, kolektivize olma
**hemûkî bûn** *l/ngh* kolektifleşmek, kolektivize olmak
**hemûkîkirin** *m* kolektifleştirme, kolektivize etme
**hemûkî kirin** *l/gh* kolektifleştirmek, kolektivize etmek
**hemûkîtî** *m* ortaklaşacılık, kolektivizm
**hemûşk** *h* **1.** tamamen **2.** *rd* olanca
**hemvatinî** *rd* görevdeş
**hemvatinîtî** *fizy/m* görevdeşlik
**hemwar** *rd* hemşeri
**hemwate** *nd/rd* anlamdaş, eş anlamlı, sinonim
**hemwatetî** *rz/rd* anlamdaşlık, eş anlamlılık
**hemwateyî** *rz/rd* eş anlamlı
**hemwelatî** *nd/nt* vatandaş, yurttaş ~ dan vatandaşlığa alınmak
**hemwelatîbûn** *m* vatandaşlık, yurttaşlık
**hemwelatîtî** *m* vatandaşlık
**hemwezîfe** *rd* görevdeş
**hemwezîfetî** *fizy/m* görevdeşlik
**hemwezn** *rd* mütevazin, oranlı
**hemxakî** *rd* koloni
**hemxelwet** *rd* halvet arkadaşı
**hemxem** *rd* dertdaş
**hemxwîn** *rd* kandaş
**hemxwînî** *m* kandaşlık
**hemyan** *m* kuşak
**hemyar** *rd* dost, birbiriyle dost olan
**hemzad** *rd* ikiz
**hemzade** *rd* aynı candan olan
**hemzayend** *rd* hemcins
**hemzayendbaz** *nd/nt* eşcinsel, homoseksüel
**hemzayendbazî** *m* eşcinsellik, homoseksüellik
**hemze** *rz* hemze
**hemzeman** *rd* **1.** çağdaş **2.** zamandaş
**hemzemîn** *rd* hemzemin
**hemzift** *m* baltız
**hemzik (I)** *rd* karındaş
**hemzik (II)** *m* bir yemek çeşidi
**hemziman** *nd/nt* **1.** dildaş **2.** *mec* ağzı bir
**hemzimanî** *m* **1.** dildaşlık **2.** *mec* ağzı bir olma
**hemzir** *n* ufak ama çalışmada güçlü eşek
**hen** *bnr* han (I)
**henap** *bot/m* **1.** hünnap, çiğde (Zizyphus sativa) **2.** henap, inap, sincî (bu ağacın yemişi)
**henar** *nd/nt* elçi
**henarî** *m* elçilik
**henas** *bnr* henase
**henase** *m* soluk, nefes ~ **dan** soluk vermek, nefes vermek ~ **dan û stendin** soluk (veya ) alıp vermek ~ **girtin** soluk (veya nefes) almak ~ **stendin** soluk (veya nefes) almak
**henasebar** *rd* solunabilir
**henasedar** *rd* nefesli
**henaseteng** *rd* soluk (veya nefes) darlığı olan
**henasetengî** *bj/m* yelpik, soluk darlığı, nefes darlığı
**henav** *bnr* hinav
**henc** *m* ilinti, teyel ~ **kirin** teyel yapmak (veya atmak)
**hencandin** *m* teyelleme
**hencandin** *l/gh* teyellemek
**hencar** *m* adet
**hencav** *ant/m* kas, adale * **hestî û hencavê min diêşin** kemik ve kaslarım ağrıyor
**hencet** *bnr* hincet
**henckirin** *m* ilgileme, teyelleme
**henckirin** *l/gh* ilgilemek, teyellemek
**henckirî** *rd* teyelli, teyellenmiş
**hencûr** *bnr* hingur
**hendaze (II)** *m* **1.** endaze (65 santimlik ölçü) **2.** hendese, geometri **3.** *mec* ölçü (aşırı olmama, ılınlı, uyun olma durumu) * **mirovekî xwezan e, hendaze ye** kendini bilen, ölçüyü kaçırmayan biridir **4.** *mec/rd* titiz **5.** *rd* sakıntılı **(bi)** ~ **axaftin (peyîvîn** an jî **xeber dan)** sözü tartmak
**hendazetî** *m* **1.** ölçülülük, itidal **2.** ihtiyat, sakınma, sakıntı **3.** titizlik
**hendazetîkirin** *m* ihtiyat etme, sakınma
**hendazetî kirin** *l/gh* ihtiyat etmek, sakınmak
**hendazeyî** *rd* geometrik
**hendef** *m* uçurum
**hendek** *m* hendek
**hender** *m* gurbet, yad eller, yabancı memleket
**hendese** *m* hendese, geometri

**hendeseyî** *rd* geometrik
**hendesî** *rd* geometrik
**hendezeyane** *rd/h* **1.** ölçülüce **2.** titizce * **rayeyên xwe bi hendazeyane bi kar dianî** kendi yetkilerini titizce kullanıyordu
**hendiwan** *m* karpuz
**hendizandin** *m* ölçme, ölçüp biçme
**hendizandin** *l/gh* ölçmek, ölçüp biçmek
**hendu** *m* tamir, onarım
**henduker** *nd/nt* tamirci
**hendukerî** *m* tamircilik
**hendukirin** *m* tamir etme
**hendu kirin** *l/gh* tamir etmek
**hene (I)** *m* **1.** kına **2.** taş yosunu kınası **3.** öğütülmüş bitki dalları kınası
**hene (II)** *m* kuma
**henef** *m* musluk
**henefî** *zo/m* su tavuğu (Fulica atra)
**henek** *m* şaka ~ **bi (yekî) kirin 1)** (birine) şaka etmek (veya yapmak) **2)** (birini) alaya almak ~ (an jî **hewes) bûn, bûn bera** şaka iken kaka olmak (veya şakayı kakaya çevirmek) ~ **di xwe de bihartin** şaka kaldırmak, şakaya gelmek ~ **di xwe de nebihartin** şaka kaldırmamak, şakaya gelmemek ~ **dibin genek** şaka iken kaka olmak (veya şakayı kakaya çevirmek) ~ **jî hema henekên xweş** lâtife lâtif gerek ~ **kirin** şaka yapmak ~ **pê kirin** (birine) şaka etmek ~ **menek** (an jî ~ **menek me got lê)** şaka maka (veya şaka maka derken) ~ **menek tune** (bir kimsenin, bir durumun) şakası yok * **henek meneka vê nexweşînê tune** bu hastalığın şakası yok ~ **û genek** şaka maka ~ **û qerf** şaka ve espri ~ **û qerf kirin** espri yapmak ~**ên bi destan** el şakası ~**ên devkî** ağız şakası ~**ên (yekî) dilê (yekî) girtin** şakaları birine dokunmak ~**ên xwe pê kirin** (biriyle) alay geçmek (veya etmek), alaya almak, dalga geçmek
**heneka** *h* şakadan
**henekane** *h* şakaca
**henekar** *nd/nt* şakacı
**henekarî** *m* şakacılık
**henekbaz** *nd/nt* şakacı
**henekbazî** *m* şakacılık
**heneker** *nd/nt* şakacı, lâtifeci
**henekerî** *m* şakacılık, lâtifecilik
**henekhez** *nd/nt* şakacı, şaka seven
**henekhezî** *m* şakacılık, şaka sevme
**henekkirin** *m* şaka etme
**henek kirin** *l/gh* şaka etmek
**henekok** *m* **1.** şakacık **2.** evcilik
**henekoyî** *rd* şakacı, lâtifeci
**henek pê kirin** *l/bw* (birini) gırgıra almak (veya getirmek), tiye almak, matrağa almak
**henetî** *m* kumalık
**henekvan** *rd* şakacı (şaka yapmaktan hoşlanan, muzip)
**henekvanî** *m* şakacılık
**heneş** *n* eşek
**heneza** *n* **1.** kuma çocuğu **2.** üvey evlât
**heng (I)** *m* **1.** zaman **2.** *ast* zaman **3.** form (tam zamanında olan) * **tam di henga xwe de ye** tam formunda
**heng (II)** *lşk/m* alay
**heng (III)** *zo/m* arı, bal arısı (Apis mellifica)
**heng (IV)** *m* **1.** eğlence, eğlenti, âlem ~**a bi araq** rakı âlemi **2.** eğlence (eğlenceli ve hoşça vakit geçirten şey) ~ **çêkirin** eğlence yapmak ~ **û bezm kirin** âlem yapmak
**hengam** *m* **1.** zaman, çağ **2.** süre, müddet, mühlet, vade, mehil **3.** mevsim
**hengame (I)** *bnr* hengam
**hengame (II)** *m* hengame, gürültü, patırtı, şamata, kavga * **em ji ber hengameyê hev nabihîzin** gürültüden dolayı birbirimizi duyamıyoruz
**hengav** *m* **1.** adım, kademe **2.** adım (girişim, hamle)
**hengawe** *m* gösteri
**hengdar** *rd* eğlenceli
**hengdêr** *rd* eğlendirici
**henger** *rd* münafık
**hengerî** *m* münafıklık
**hengevan** *nd/nt* arıcı
**hengevanî** *m* arıcılık
**hengîl** *m* bakraç
**hengkirin** *m* eğlenme
**heng kirin** *l/gh* eğlenmek
**hengkuj** *bot/m* nilüfer (Nympha)
**hengor** *bnr* hengur
**hengur** *m* alaca karanlık
**hengvan** *bot/m* çadır uşağı (Dorema ammoniacum)
**henî (I)** *bnr* enî
**henî (II)** *m* karpuz
**henîfe** *m* musluk
**henîfedar** *rd* musluklu
**henîfefiroş** *n* muslukçu (satan kimse)
**henîfefiroşî** *m* muslukçuluk
**henîfevan** *n* muslukçu
**henîfevanî** *m* muslukçuluk
**Henîfî** *nd/rd* Hanefî
**Henîfîtî** *m* Hanefîlik (İslâmlıkta sünnet ehli denilen dört mezhepten biri)
**henîşk** *bnr* enîşk
**hentbol** *sp/m* hentbol, el topu
**henteş** *m* huzurda bulunma hali
**henûn** *rd* mülâyim
**henûnî** *m* mülâyimlik
**henûnok** *rd* mülâyim, mülâyimce
**henûntî** *m* mülâyimlik
**hewn** *m* akıl
**hewngir** *rd* **1.** akılcı **2.** *sos* akılcı, rasyonalist
**hewngirî** *m* **1.** akılcılık, akılcılıkla ilgili **2.** *sos* akılcılık, rasyonalizm
**henzel** *bot/m* ebucehil karpuzu, acı elma, acı hıyar, it hıyarı (Citrullus colocynthis)

**henzêl** *bnr* erzêl
**hepatît** *m* hepatit
**hepatolojî** *m* hepatoloji
**hepavêj** *nd/rd* hapçı (uyuşturucu hap kullanan kimse)
**hepavêjî** *m* hapçılık
**hephêpik** *zo/m* hüthüt kuşu
**hepik (I)** *n* külot
**hepik (II)** *m* kirkit (dokumacılıkta atkı iplerini sıkıştırmak için kullanılan dişli araç)
**hepirkirin** *m* bastırma (zararlı bir olayı önleme)
**hepir kirin** *l/gh* bastırmak (zararlı bir olayı önlemek)
**hepis** *bnr* heps
**hepisandin** *m* hapsetme
**hepisandin** *l/gh* hapsetmek
**hepisîn** *m* hapsolma
**hepisîn** *l/ngh* hapsolmak
**hepisxane** *bnr* hepsxane
**hepişandin** *l/gh* **1.** doldurmak **2.** atıştırmak **3.** tıkıştırmak (iyice çiğnemeden yemek yemek)
**hepişandî** *rd* dolu, doldurulmuş olan
**hepişîn** *m* **1.** dolma **2.** atıştırılma **3.** tıkıştırılma
**hepişîn** *l/ngh* **1.** dolmak **2.** atıştırılmak **3.** tıkıştırılmak
**hepî kirin** *l/gh* ham etmek (çocuk dilinde)
**hepo (I)** *m* kirkit (dokumacılıkta atkı iplerini sıkıştırmak için kullanılan dişli araç)
**hepo (II)** *m* mama (çocuk dilinde; yemek, yiyecek)
**heps** *m* **1.** hapis (bir yere kapatılıp salı vermeme) **2.** hapis (hapis cezası) * **wê heft salan hepsê bikişîne** yedi yıl hapis yatacak **3.** hapis (hapishane, ceza evi) **4.** hapis (tavla oyununda) ~ **dan (yekî)** hapis giymek ~ **dan ser pişta (yekî)** hapis giymek ~ **kirin** hapsetmek ~ **kişandin** hapis yatmak ~ **razan** hapis yatmak ~ **xwarin** hapis yemek (veya giymek) ~**a hundirû** oda hapsi
**hepsbûn** *m* hapsedilme, hapsolma
**heps bûn** *l/ngh* hapsedilmek, hapsolınak
**hepsbûyîn** *m* hapsediliş, hapsoluş
**hepsî** *rd/nd* **1.** mahpus, tutuklu **2.** *mec/rd* kabız
**hepsîtî** *m* **1.** mahpusluk **2.** kabızlık
**hepsîbûn** *m* kabız olma
**hepsî bûn** *l/ngh* kabız olmak
**hepskirin** *m* **1.** hapsetme (bir suçluyu hapishaneye kapatına) **2.** hapsetme (bir yere kapatıp salı vermeme)
**heps kirin** *l/gh* **1.** hapsetmek (bir suçluyu hapishaneye kapatmak) **2.** hapsetmek (bir yere kapatıp salı vermemek)
**hepsxane** *m* hapishane
**hepstî** *m* hapislik
**hepşû** *m* hapşu
**hepû** *bnr* hepo (I)
**hepyek** *nd* hepyek

**Heq** *nd* Hak (Allah'ın adlarından biri)
**heq** *n* **1.** hak (adaletin, hukukun gerektirdiği veya birine ayırdığı şey) **2.** hak (geçmiş ve harcanmış emek) * **heqê dê nayê dayîn** anna hakkı ödenmez **3.** hak (pay) * **heqê meqesê** makas hakkı **4.** hak, ücret (emek karşılığı) * **em xebitîne, heqê xwe dixwazin** çalıştık, hakkımızı isteriz * **heqê xwe bide ez te bibim** ücretini ver seni götüreyim * **heqê kirê** kira ücreti **5.** hak (doğru, gerçek) * **gotina min heq e** sözüm haktır **6.** harçlık, masraf * **hema heqê cigareyê bidin me bes** e sigara harçlığımı verse yeter **7.** eder, fiyat * **heqê malê xwe bibêje** malının fiyatını söyle **8.** ayak teri, ayak kirası (hizmet için bir yere gönderilen kimseye verilen ücret) **9.** *rd* haklı * **gotineke heq** haklı bir söz * **dozeke heq** haklı bir dava **10.** *rd* öz * **birayê min ê heq** öz kardeşim * **apê min ê heq** öz amcam ~ **anîn şûnê** hak yerini bulmasını sağlamak ~ **bi dest xistin** hak kazanmak ~ **cihê xwe dibînin** hak yerini bulur (veya hak yerde kalmaz) ~ **dan (yekî)** (birine) hak vermek * **der barê vê yekê de ez heq didime te** bu konuda sana hak veriyorum ~ **dan gotina rastiyê** hakkı teslim etmek, gerçek veya doğru olduğunu söylemek ~ **di dest de bûn** haklı olmak ~ **e 1)** haktır **2)** gerek ki ~ **hatin şûnê** hak yerini bulmak ~ **heq kirin** hakkını teslim etmek ~ **jê re kifş kirin** (birine) hak tanımak ~ **kirin 1)** hak etmek (hak kazanmak) * **du sal bi şûn de wê malnişîniyê heq bike** iki yıl sonra emekliliğe hak kazanacak **2)** hak etmek (lâyık olduğu -kötü- karşılığı bulmak **3)** hak etmek (bir başarı dolayısıyla ödüllendirilmek) ~ **kiriye 1)** hak etmiş **2)** şeytan azapta gerek ~ **li ser (yekî) hebûn** tuz ekmek hakkı olmak ~ **li vê dinyayê safî dibin** hak yerini bulur (veya hak yerde kalmaz) ~ **naçin qiyametê** hak yerini bulur (veya hak yerde kalmaz) ~ **navê Xwedê** rabbena hakkı için ~ **pê dan** (birine) hak vermek ~ **xwarin** hak yemek ~**a li gor seqa** müstahak olma durumu ~**a Xwedê** Allah hakkı için, Allah için ~**ê bi heq 1)** hak neyse o **2)** emeğinin tam karşılığı, ücret ne konuşulmusu o ~**ê (yekî) bi ser de çûn** hakkı geçmek * **ha rahêje vî pereyî bila heqê te bi min de neçe** al bu parayı hakkın bana geçmesin ~**ê bizina kol ji ya kel re namîne** boynuzsuz keçinin ahı boynuzlu keçiye kalmaz ~**ê çavpêkirinê** (an jî **çavpêketinê**) göz hakkı ~**ê (yekî) danê 1)** hakkını vermek * **ev mamoste tim heqê xwendekaran dide wan** bu öğretmen herzaman öğrencilerin hakkını verir **2)** (birine ağzının payını (veya ölçüsünü) vermek ~**ê darê zorê** yumruk hakkı **(ji)** ~**ê (...) derketin 1)** becermek **2)** (bir zorluğun) altından kalkmak ~**ê ebrê he-**

**sab kirin** daraya atmak (veya çıkarmak) **~ê evdan** kul hakkı **~ê gotinê stendin** söz almak (konuşmaya başlamak) **~ê (yekî) hebûn 1)** hakkı olmak (payı, alacağı olmak) **2)** hakkı olmak (sözünde, düşüncesinde, iddiasında haklı olmak) **~ê (yekî) heye** hakkı var (doğru düşünüyor, doğru söylüyor, doğru davranıyor) * **heqê diya min heye, gere ez neyêm** anamın hakkı var, gitmemem lazım **~ê hilbijartinê** *hiq* seçme hakkı **~ê îlticayê** *hiq* sığınma hakkı **~ê kehyatiyê** kâhyalık hakkı **~ê ketina (cihekî)** (bir yere) giriş ücreti **~ê kiziriyê** kâhyalık hakkı **~ê (yekî) li ser (...) hebûn** hakkı geçmek * **qey hindik heqê xaltîka min li ser min heye?** teyzemin az mı hakkı bana geçmiş? **~ê mêran gere meriv winda neke** yiğidi öldür hakkını yeme **~ê navê xwe dan** adını taşımak (sahip olduğu adın sorumluluğunu yüklenmiş olmak) **~ê (yekî) pê de çûn** (an jî **hatin**) hakkı geçmek * **ha rahêje vî pereyî bila heqê te bi min de neyê** al bu parayı hakkın bana geçmesin **~ê sukûtê** sus payı, susmalık **~ê şîr** süt hakkı **~ê (yekî) tê de hebûn** hakkı olmak (payı, alacağı olmak) **~ê têketanê** giriş ücreti **~ê wî bi serî ye** hakkından fazlasını almış **~ê (yekî) xwarin 1)** hak yemek **2)** (birinin) hakkını yemek **~ê xwe helal kirin** (an jî **nekirin**) hakkını helâl etmek (veya etmemek) **~ê xwe stendin** hesabını almak **~ê xwînê** *hiq* kan akçesi * **bavê wî heqê xwîna kurê xwe stend** babası oğlunun kan akçesini aldı **~ê yê mezin** büyükten büyüğe (mirasın önce büyüğe, o ölünce kalanın en büyüğüne geçmesi kuralı) **~ê zehmeta xwe stendin** semeresini vermek **~ê zengûyan** gelinin attan hediyesini almayınca inmeme durumu **~ên ajalan** (an jî **heywanan**) hayvan hakları **~ên mirovan (merivan** an jî **însanan)** insan hakları **~ên vesînordar** (an jî **bendkirî**) sınırlı haklar

**heqa** *m* dört yaşında koyun

**heqane** *h* hakça, âdilane

**heqanet** *h* hakikaten, gerçekten * **heqanet niha tu vî tiştî dixwazî** sen şimdi gerçekten bunu istiyor musun?

**heqaniyet** *m* hakkaniyet * **divê mirov riya heqaniyetê bernede** insan hakkaniyetten ayrılmamalı

**heqanî** *rd* **1.** âdil, hakka uygun **2.** *m* hakkaniyet

**heqaq** *nd/nt* hakkâk, oymacı

**heqaqî** *m* hakkâklık, oymacılık

**heqaret** *m* akaret **~ kirin** hakaret **~ lê bûn** (biri) hakaret görmek, hakarete uğramak **~ lê kirin** (birine) hakaret etmek

**hakaretî** *m* hakaret

**heqaretker** *rd* hakaret eden, hakaret edici

**heqbe** *bnr* heqîb

**heqdar** *rd* **1.** haklı, hak sahibi **2.** haklı * **ez jî, ji xwe reş şaş mam ji van her duyan kîjan heqdar e** ikisinden hangisi haklı ben de şaşırdım **~ bûn** haklı olmak **~ derketin** haklı çıkmak **~ dîtin** haklı bulmak **~ î!** haklısın!

**heqdarî** *m* haklılık

**heqder kirin** *l/gh* ikrar etmesini sağlamak, itiraf etmesini sağlamak

**heqdest** *n* el emeği, ücret

**heqdestî** *m* işçilik (yaptığı iş karşılığı işçiye verilen ücret)

**heqebok** *m* kahkaha **~ jê çûn** kahkaha atmak

**heqet** *b* gerçekten

**heqeten** *g* gerçekten, nitekim

**heqeziman** *n* güvence akçesi, rücu hakkı

**heqê firotinê** *m* satımlık, beyiye

**heqê neqliyeyê** *m* nakliye ücreti

**heqê qeydiyê** *nd* kaydiye

**heqê rayavêtinê** *nd* oy hakkı, oy kullanma hakkı

**heqê şivantiyê** *nd* çobanlık, çobana verilen ücret

**heqhez** *rd* hakikatı seven

**heqilyeqîn** *rd* kesin

**heqî** *m* **1.** hak, adalet * **divê ji heqiyê averê nebe** haktan ayrılmamalı **2.** hak (dava veya iddiada gerçeğe uygunluk, doğruluk) * **ez di vê daweyê de heqiyê nabînim** bu davada hak görmüyorum **3.** haklılık, hakikat, doğruluk **4.** hakkaniyet * **gere mirov riya heqiyê bernede** insan hakkaniyetten ayrılmamalı **~ ajotin** hakaniyeti savunmak **~ cihê xwe dîtin** hak yerini bulmak **~ di destê neheqiyê de barebar e** adalet adaletsizlerin pençesine düşmüş

**heqîb** *m* heybe

**heqîpfiroş** *nd/nt* heybeci (satan kimse)

**heqîq, heqîqe** *m* akik

**heqîqet** *m* **1.** hakikat, gerçek **2.** hakikat, gerçek (yalan olmayan, doğru olan şey) **3.** *fel* hakikat, gerçek (düşünülen, tasarlanan, imgelenen şeylere karşıt olarak var olan)

**heqîqetbîn** *nd/rd* **1.** gerçeği gören, doğru görüşlü **2.** gerçekçi, realist (gerçeği gören, ona göre davranan)

**heqîqetbînî** *m* **1.** gerçeği görme, doğru görüşlülük **2.** gerçekçilik

**heqîqeten** *h* hakikaten, sahiden

**heqîqetî** *m* gerçeklik

**heqîqetgo** *rd* doğrucu, hakikatı söyleyen

**heqîqetperest** *rd* gerçeksever

**heqîqetperestî** *m* gerçekseverlik

**heqîqî** *rd* **1.** hakiki, gerçek (var olan, varlığı inkar edilmeyen, olgu durumunda olan) **3.** hakiki, gerçek, sahici (aslına uygun nitelikleri taşıyan) * **hingivî heqîqî** hakiki bal

**heqîr** *rd* alçak

**heqîw** *bnr* heqîb

**heq kirin** *m* **1.** haketme **2.** tanıma, kabul etme

(hukukî yönden; varlığını tanıma) **3.** anlama (doğru ve yerinde bulma)
**heq kirin** *l/gh* **1.** haketmek **2.** tanınak, kabul etmek (hukukî yönden; varlığını tanımak) * **ez mafên di we heq dikim** haklarınızı tanıyorum 3. anlamak (doğru ve yerinde bulmak) * **me ev heq kir lê...** bunu anladık ama...
**heqkirî** *rd* müştahak, hak etmiş olan
**heqlebaz** *nd/nt* üçkağıtçı
**heqlebazî** *m* üçkağıtçılık
**heqnas** *rd* hakşinas, haktanır
**heqnasî** *m* hakşinaslık, haktanırlık
**heqnenas** *rd* haktanımaz
**heqnenasî** *m* haktanımazlık
**heqnexweş** *nd/rd* batakçı (borcunu ödemeyi alışkanlık haline getirmemiş kimse, borcuna sadık olmayan)
**heqnexweşî** *m* batakçılık, borcuna sadık olmama
**heqnexweşîkirin** *m* çamura yatına (borcunu ödememe)
**heqnexweşî kirin** *l/gh* çamura yatmak (borcunu ödememek)
**heqparêz** *nd/nt* hak savunucu, insan hakları savunucusu
**heqparêzî** *m* hak savunuculuğu insan hakları savunuculuğu
**heqperest** *rd/nd* hakperest, haksever
**heqperestî** *m* hakperestlik, hakseverlik
**heqperwer** *rd* hakşinas, haktanır, borcuna sadık
**heqperwerî** *m* hakşinaslık, haktanırlık, borcuna sadık olma
**heqrê** *m* yol parası, harcırâh
**heqşikênandî** *rd* **1.** hakı gasp edilmiş olan **2.** hakları ihlal edilmiş olan
**heqşikênandîbûn** *m* **1.** hakı gasp edilmiş olma **2.** hakları ihlal edilmiş olma
**heqşirb** *m* öşür
**heqşînas** *rd* hakşinas, haktanır
**heqşînasî** *rd* hakşinaslık, haktanırlık
**heqxwar** *rd* haktanımaz, batakçı (el alemin hakkını yiyen, borcunu ödemiyen)
**heq xwarin** *l/gh* hak yemek
**heqxwarî** *m* haktanımazlık, batakçılık
**heqxwer** *rd* haktanımaz, batakçı
**heqxwer** *m* haktanımazlık, batakçılık
**heqxweş** *rd* borcuna sadık
**heqxweşbûn** *m* borcunu bilme
**heqxweş bûn** *l/ngh* borcunu bilmek
**heqxweşî** *m* borcuna sadık olma
**her** *rd* her * **her roj were mala me** her gün bize gel ~ **alî (hêl an jî cih)** dört bucak ~ **berxik diçe maka xwe ve** her kes soyuna çeker ~ **bijî 1)** aferin, çok yaşa, bin yaşa, var o, bravol **2)** aşk olsun! ~ **bijîn** yaşayın, yaşasın, bravo ~ **car** her defa, her zaman ~ **carê fikirek hatin (yekî)** kırk fikirli olmak ~ **carê hezar** biner * **her carê hezarî bide wan** onlara biner biner ver ~ **carê xwe bi hawayekî girê dan** kılıktan kılığa girmek ~ **çar aliyê dinyayê** dünyanın dört bucağı ~ **çendî** ne denli * **şaşwaziya di wî her çendî mezin be, bila mezin be bedewiya wê derê hîn mezin bû** şaşkınlığı ne denli büyük olursa olsun oranın güzelliği daha büyüktü ~ **çelengek jinek li dû ye** her başarılı erkeğin arkasında bir kadın vardır ~ **çêlek tê dotin her gotin nayê gotin** her söz söylenmez ~ **çi** her ne ~ **çi be 1)** her ne hal ise **2)** neyse, ne ise (konuyu uzatmayalım, konuyu kapatalım) ~ **çi jî bibe** ne olursa olsun ~ **çi qas 1)** gerçi **2)** her ne kadar **3)** ne denli ~ **çi qas çû 1)** gitgide * **şalê min çi qas diçe biçûk dibe** pantolonum gitgide küçülüyor **2)** gittikçe ~ **çiya di bin berfa xwe de ye** herkes kendi derdini bilir ~ **çûn** giderek * **nexweşîn her çû hîn xerabtir bû** hastalık giderek daha kötü bir hal aldı ~ **dar li ser koka xwe hêşîn tê** herkes kendi soyuna çeker ~ **demcihan e 1)** her dem taze (yaşlı olduğu halde genç gözüken) **2)** her dem taze (yıl boyunca yeşil yapraklı bitki) ~ **der bûn (...)** ortalığı .... almak * **her der bûye çamûr** ortalığı çamur almış ~ **derê (...) girtin** ortalığı .... almak ~ **derê mij girtiye** ortalığı sis almış ~ **diçe 1)** gittikçe **2)** günden güne ~ **diçe dixerife** buldukça bunar, bulmuş da bunuyor (bulduğuyla yetinmiyor) ~ **diranekî (yekî) salekî hatin** bildiğini yedi mahalle bilmez (çok kurnaz ve bilmiş olmak) ~ **diranê (wî) salek hatine** kaçın kur'ası ~ **dirik ji bo virik** boştan lâflar boktan şeyler içindir ~ **dîk li ser zibla xwe xurt e** her horoz kendi çiftliğinde öter ~ **du çav gewr bûn 1)** şaşa kalmak **2)** dehşete düşmek ~ **du çav ji bo seriyekî** iki göz bir baş içindir ~ **du dest ji hev lome nakin 1)** (birbirininin) halinden anlamak **2)** bu işten minnet olmaz ~ **du dinya li ba (yekî) yek bûn** (biri) keramet sahibi olmak ~ **du gayê nîrekî bûn** ikiside ahmak olmak, ikisi de birbirinden beter olmak ~ **du jî feqîr, kotîtî ye** iki çıplak bir hamama yakışır ~ **du ling kirin solekê** iki ayağı bir papuca sığdırmak ~ **du lingên (yekî) xistin soleke teng** iki ayağını bir pabuca sokmak ~ **du piyên (yekî) xistin soleke teng** iki ayağmı bir pabuca sokmak ~ **du rê diçin gundekî** ikisi bir kapıya çıkmak ~ **du rê çûn gundekî** ikisi bir kapıya çıkmak ~ **dukan** her ikisi ~ **êvar** akşamları ~ **êvar û sibeh** akşamlı sabahlı ~ **gav** sürekli, daima, sürekli olarak ~ gav (tiştek) pizrika ser zimanê (yekî) bûn (bir şeyle) yatıp kalkmak ~ **gav diya mirov kur nayne carinan qîz jî tîne** papaz her gün pilâv yemez ~ **gava Xwedê** her zaman ~ **gavekî** adım başı (veya adım başında) ~ **giya li**

ser helqa xwe dirêze her ot kendi kökü üzerine yeşerir ~ **giya li ser koka xwe hêşîn dibe** her ot kendi kökü üzerine yeşerir ~ **goşekî cilê (yekî) li aliyekî çûn** yaka bir tarafta, paça bir tarafta olmak ~ **gotinek ji derekê anîn** ağız kalabalığına getirmek ~ **gotinek li derekê xistin** damdan çardağa atlamak ~ **hal** her halde ~ **hebî** var ol ~ **henekek rastiyek di bin de ye** (an jî **heye**) her şakanın altında bir doğruluk payı vardır, her şakanın altına bir gerçeklik yatar ~ **hevrazek derbejêrek** ~ **derbejêrek hevrazek li ber e** her yokuşun bir inişi her inişin bir yokuşu vardır ~ **hevrazek nişîvek li dû ye** her yokuşun bir inişi, her inişin bir yokuşu vardır ~ **heye** *rd* kaim (hep var olan) ~ **kes bi awayek karê xwe dike** her yiğidin bir yoğurt yiyişi vardır ~ **kes bi birîna xwe dinale** herkes kendi derdine yanar ~ **kes bi derdê xwe dizane** herkes kendi derdini bilir ~ **kes bi êşa xwe dinale** ağrılarda göz ağrısı, her kişinin öz ağrısı ~ **kes bi nav û nîşana xwe** adlı adıyla ~ **kes bi zimanê xwe diaxive (dipeyîve** an jî **qezî dike) 1)** herkesin düşüncesi kendini bağlar **2)** herkes bilgisi, ölçüsü, niyeti ölçüsünde konuşur ~ **kes bi haran bi dilê xwe tîne** ümit dünyası (herkes kendini bir şeyle avutur) ~ **kes bila li çareya serê xwe binêre 1)** herkes başının çaresine baksın **2)** altta kalanın canı çıksın ~ **kes biliyê êşa xwe ye** ağrılarda göz ağrısı, her kişinin öz ağrısı ~ **kes di etra derdê xwe de ye** herkes kendisini düşünür ~ **kes diçe ba dangê xwe** herkes akrabasına, tanıdığına gider (olumsuz anlamda) ~ **kes dikeve gora xwe** her koyun kendi bacağından asılır ~ **kes êşa (an jî derdê) xwe hiltîne** ağrılardan göz ağrısı, her kişinin öz ağrısı ~ **kes here mala xwe** evli evine köylü köyüne ~ **kes ji bajarê xwe xeber dan** gemi azıya galmak (söz dinlemez olmak) ~ **kes ji bavê xwe çêtir e lê wekî bavê xwe nabe** herkes kendi babasından iyi ama babası kadar olamaz ~ **kes ji bo miriyê xwe digirî** her kes kendi derdine ağlar ~ **kes ketin etra canê (an jî ruhê) xwe** can cana baş başa ~ **kes kişîn** el ayak (veya el etek) çekilmek ~ **kes li devê mezinê xwe dinêre** at binicisine göre kişner ~ **kes li gor qeweta xwe** herkes gücüne göre ~ **kes li gorî hempayê (an jî hingûfê) xwe** davul dengi dengine diye çalar ~ **kes li hêviya roja xwe ye** herkes sırasını savar ~ **kes li koka xwe diçe** otu çek köküne bak ~ **kes li xwe ye 1)** kerkes kendi derdinde **2)** herkes kendi derdini düşünür ~ **kes mexsed û miradek li ber e** her yiğidin gönlünde bir aslan yatar ~ **kes lawê bavê xwe ye** herkes babasının oğlu ~ **kes mêvanê emelê xwe** her koyun kendi bacağından asılır ~ **kes nikare dîzikan çêke, gere çemilan jî pê ve deyne** herkes kaşık yapar, ama sapını ortaya (veya doğru) getirmez ~ **kes seriyek kişandin** herkes başına buyruk olmak ~ **kes şêrê ber derê xwe ye** her horoz kendi çöplüğünden öter ~ **kes û debara (ebûra** an jî **îdareya) xwe** geçim dünyası ~ **kes û zerara xwe** altta kalanın canı çıksın ~ **kes xwe li arê xweş digire** herkes güzel lokma peşinde ~ **kes, Xwedê li gora dilê (wî) bidê** Allah herkesin gönlüne göre versin ~ **kes zane hespê xwe biajo** at binenin (veya iş bilenin), kılıç kuşananın ~ **kesî li rêçekê neajo** her kuşun eti yenmez ~ **kezîzerek simbêlsorek li ber e** her dilberin bir yağız delikanlısı vardır ~ **ku diçe 1)** gitgide **2)** gittikçe ~ **mêr di dilê xwe de şêr e, her mirov di dilê xwe de şêrê şêran e** her erkek kendini aslan sayar, her insan da kendini aslanlar asalanı sayar ~ **mirov di dilê xwe de şêr e** herkesin gönlünde bir aslan yatar ~ **mih (an jî mî) bi lingê xwe bi dar de dibe** her koyun kendi bacağından asılır ~ **mih bi lingê xwe li dar dikeve** her koyun kendi bacağından asılır ~ **nêrî bi dengê xwe dikale** ateş düştüğü yeri yakar ~ **pez û pepikê xwe** her koyun kendi bacağından asılır ~ **qubeya spî ne ziyaret e** her gördüğün mezar yatır değildir ~ **ro miro** hafta sekiz, gün dokuz ~ **roj 1)** her gün **2)** *h* gündüzleri ~ **roj ~ roj** günü güne ~ **roj wekî hev hilnayê** şartlar önemlidir, dün dündür, bugün bugündür ~ **roja Xwedê** Allahın her günü, Allahın (veya Tanrının) günü * **ev zilam her roja Xwedê li vir e** bu adam Allahın günü burda ~ **rojek xêrek pê re ye** sabah ola hayır ola ~ **sal zikê te tije be û dawa te vala be** hamile kalıp hayrını görmiyesin, çocuk büyütmiyesin, çocuğun gebersin (doğan çocuk için) ~ **seriyek dengek jê çûn** her kafadan bir ses çıkmak ~ **sê telaqên jinberdanê** talakım üzerine, namusum ve şerefim üzerine ~ **sêkan** her üçü ~ **sibehek xêrek pê re ye** sabah ola hayır ola ~ **teyr bi baskê xwe difire** her koyun kendi bacağından asılır ~ **teyrik bi refê xwe re 1)** herkes kendi akrabalarıyla olmalı **2)** herkes kendi sürüsüyle hareket etmeli ~ **tim (an jî daîm)** her daim, her zaman ~ **tişt** her şey ~ **tişt bi emrê Xwedê ye 1)** Allah'ın dediği olur **2)** ölüm Allah'ın emri ~ **tişt bi pereyan e** selâm para, kelâm para ~ **tişt bi pişta xelkê ye** el mi yaman bey mi yaman? ~ **tişt bi sexbêrî** bu sıcağa kar mı dayanır? ~ **tişt bi şîranî (xweş e) 1)** her şey tatlılıkla **2)** turpun sıkından seyreği iyidir (görüşmeyi, konuşmayı sıklaştırmamak doğrudur) ~ **tişt bi usûl** çoğu zarar, azı karar ~ **tiş bi ziravî mirov bi stûrî dişikê** (an jî ~ **tişt bi ziravî dişkê mirov bi stûrî)** baskı insanı çökertir ~ **tişt di dema xwe de xweş e** her şey tadında

güzeldir ~ **tişt di tehma xwe de** her şey tadında güzeldir ~ **tişt dibihure têra cihêz nabihure** her şey unutulur da çeyiz torbası unutulmaz (adama koyan en önemli şeyin unutulamayacağı için söylenir) ~ **tişt diqede merivatî naqede** her şey biter insanlık bitmez ~ **tişt heye heta şîrê teyran jî** kuş sütünden başka her şey var ~ **tişt li cihê (an jî şûna) xwe ye** yerli yerinde ~ **tişt li gora bihayê xwe ye** ucuz etin yahnisi yavan (veya tatsız) olur ~ **tişt weka meriv nabe** herkesin arşınına göre bez vermezler ~ **tişt xweş e di dema xwe de** her şey kendi çağında (veya dönemin de) güzeldir ~ **tiştê tu dizanî nebêje her tiştê dibêjî bizane** her bildiğin şeyi söyleme, her söylediğin şeyi bilerek söyle ~ **tiştî** vara yoğa * **çêrî her tiştî dike** vara yoğa küfrediyor ~ **topek li dukana xwediyê xwe bi qîmet e** taş yerinde ağırdır ~ **û** ~ **1)** sürekli, daima **2)** git babam git ! (tekrarlama) * **her û here, rê naqede** git babam git, yol bitmiyor **3)** ilelebed ~ **yek (an jî jê)** her biri (veya her bir) **(filan kes)** ~ **virekî dike ku dendikek xwê tê de nîn e** atma Recep, din kardeşiyiz ~ **wekî 1)** -e gibi **2)** örneğin ~ **wekî din (hwd.)** *h* vesaire, ve diğerleri ~ **wekî vê** gibisinden, -e benzer, kabilinden ~ **wiha** ayrıca, böylelikle, bununla beraber ~ **wiha ew jî** keza, kezalik ~ **wiha tev** keza, kezalik * **berf spî, şîr jî, pembû jî her wiha tev spî ne** kar beyaz, keza süt, keza pamuk hepsi beyaz ~ **xerabî tê de heye** ipten kazıktan kurtulmuş ~ **yek** her biri, beher ~ **yek seriyek kişandin** (her biri başka bir) hava çalmak ~ **yekî** her biri ~ **zeman** her zaman

**here** *b* git * **here ber avê wê av lê biçike** (an jî **bimiçiqe**) çeşmeye gitse çeşme kuruyacak

**herac** *m* **1.** mezat **2.** müzayede artırım

**heracdar** *rd* artırımlı

**heraç** *m* **1.** yarış **2.** yarışta yenme

**heraftin** *m* yıkma, çökertme

**heraftin** *l/gh* yıkmak, çökertmek

**heram** *rd* **1.** haram **2.** *mec* haram, yasak **3.** mundar (şeriata uygun kesilmemiş hayvan) **4.** mundar (cinsel birleşmeden sonra yıkanmamış kimse) ~ **be!** haram olsun! ~ **kirin 1)** haram etmek **2)** tecrit etmek, afaroz etmek **(yek)** ~ **kirin 1)** dışlamak, **2)** (birini) aforoz etmek, tecrit etmek (ilişkiyi kesmek, selam sabahı kesmek) ~ **û teram** haram (haram ve yasak şeyler) ~ **û teram xwarin** haram yemek ~ **xwarin** haram yemek

**heramî** *nd/nt* harami

**heramîtî** *m* haramilik

**heramkirin** *m* **1.** haram etme **2.** aforoz etme, aforozlama, dıştalama, tecrit etme **3.** aforoz etme (darılıp biriyle konuşmama, ilgiyi kesip uzaklaştırma)

**heram kirin** *l/gh* **1.** haram etmek **2.** aforoz etmek, aforozlamak, dıştalamak, tecrit etmek **3.** aforoz etmek (darılıp biriyle konuşmamak, ilgiyi kesip uzaklaştırmak)

**heramkirî** *rd* **1.** haram edilmiş olan **2.** aforozlu, dıştalanımış

**heramolo** *m* aforoz ~ **bûn** aforoz olmak ~ **kirin** aforoz etmek

**heramonî** *m* aforoz ~ **bûn** aforoz olmak ~ **kirin** aforoz etmek

**heramonîbûn** *m* **1.** aforoz olma **2.** dıştalanma

**heramonî bûn** *l/ngh* **1.** aforoz olmak **2.** dıştalanmak

**heramonîbûyîn** *m* **1.** aforoz oluş **2.** dıştalanış

**heramonîkirin** *m* **1.** aforoz etme, aforozlama **2.** aforoz etme, dışlama (darılıp biriyle konuşmama, ilgiyi kesip uzaklaştırma)

**heramonî kirin** *l/gh* **1.** aforoz etmek, aforozlamak **2.** aforoz etmek, dışlamak (darılıp biriyle konuşmamak, ilgiyi kesip uzaklaştırmak)

**heramonîkirî** *rd* **1.** aforozlu, aforoz edilmiş olan **2.** dışlanmış

**heramoyî** *m* aforoz ~ **bûn** aforoz olmak ~ **kirin 1)** aforoz etmek **2)** aforoz etmek (ilişkiyi kesmek, selam sabahı kesmek)

**heramoyîbûn 1.** aforoz olma **2.** dıştalanma

**heramoyî bûn** *l/ngh* **1.** aforoz olmak **2.** dıştalanmak

**heramoyîbûyîn** *m* **1.** aforoz oluş **2.** dıştalanış

**heramoyîkirin** *m* **1.** aforoz etme, aforozlama **2.** aforoz etme, dışlama (darılıp biriyle konuşmama, ilgiyi kesip uzaklaştırma)

**heramoyî kirin** *l/gh* **1.** aforoz etmek, aforozlamak **2.** aforoz etmek, dışlamak (darılıp biriyle konuşmamak, ilgiyi kesip uzaklaştırmak)

**heramoyîkirî** *rd* **1.** aforozlu, aforoz edilmiş olan **2.** dışlanmış

**heramsî** *m* kaşkariko, oyunbozanlık (çocuk oyunlarında) ~ **kirin** oyunbozanlık etmek

**heramsîker** *nd/nt* oyunbozancı, mızıkçı

**heramsîkerî** *m* oyunbozancılık, mızıkçılık ~ **kirin** mızıkçılık etmek

**heramsîkirin** *m* mızıklanma, hile yapma

**heramsî kirin** *l/gh* mızıklanmak, hile yapmak

**heramsîtî** *m* oyunbozancılık,

**heramxur** *nd/nt* herami (haram yiyen kimse)

**heramxurî** *m* heramilik

**heramxwer** *nd/nt* herami

**heramxwerî** *m* heramilik

**heramzade** *nd/nt* haramzade

**heramzadetî** *m* haramzadelik

**heranî** *m* halay türü

**heraret** *m* hararet ~ avêtin canê (yekî) hararet basmak (vücut ısısı artmak) ~ **kirin** hararet yapmak ~ **pê re çêkirin** hararet yapmak

**heras (I)** *lşk/m* **1.** devriye **2.** nöbet (sıra ile yapılan görev) **3.** kavas

**heras (II)** *m* korku (kaygı, üzüntü)
**herasa** *nd* tekâpu
**herasewer** *rd* korkunç (korku veren, dehşete düşüren)
**herasewerbûn** *m* korkunçlaşma
**herasewer bûn** *l/ngh* korkunçlaşmak
**herasewerî** *m* korkunçluk
**herasî** *m* kavaslık
**herawî** *bnr* heramî
**herb** *m* harp, savaş ~ **kirin** harp etmek, savaş etmek
**herbeşok** *ant/m* **1.** kürek kemiği **2.** ispartola
**herbilandin** *m* **1.** dolatmak, dolandırma (dolaştırma) **2.** sarma
**herbilandin** *l/gh* **1.** dolatmak, dolandırmak (dolaştırmak) **2.** sarmak
**herbilandî** *rd* dolanık, dolanmış olan
**herbilî** *rd* **1.** dolanık, dolaşık **2.** çapraşık, girift, girişik, karışık
**herbilîbûn** *m* **1.** dolanıklık **3.** çapraşıklık, çapraşıklaşma, giriftlik, girişiklik
**herbilî bûn** *l/ngh* çapraşıklaşmak
**herbilîn** *m* **1.** dolanma (bir şeyin çevresine sarılma) **2.** sarılma **3.** çapraşma
**herbilîn** *l/ngh* **1.** dolanmak (bir şeyin çevresine sarılmak) * **ben li darê herbilîbû** ip ağaca dolanmıştı **2.** sarılmak **3.** çapraşmak
**herbilîtî** *m* **1.** dolanıklık **2.** çapraşıklık
**Herbiye** *m* Harbiye
**herbiyeyî** *rd* harbiyeli
**herbî** *rd* harbi, doğru ~ **axaftin (peyîvîn** an jî **xeber dan)** harbi konuşmak
**herbîtî** *m* harbilik
**herbkirin** *m* harp etme, savaşma
**herb kirin** *l/gh* harp etmek, savaşmak
**hercavî** *bot/m* hercai menekçe, alaca menekşe
**hercayî** *rd* hercaî, yeltek
**hercayîtî** *m* hercaîtî, yelteklik
**her çend** *nd* **1.** her ne kadar **2.** gerçi
**herçiqandin (I)** *bnr* perçiqandin
**herçiqandin (II)** *l/gh* tutulmasına neden olmak (tutuk duruma gelmesini sağlamak)
**herçiqî** *rd* tutuk
**herçiqîn** *m* tutulma (tutuk duruma gelme)
**herçiqîn** *l/ngh* tutulmak (tutuk duruma gelmek, yorgunluktan dolayı her tarafı tutulmak) * **ez herçiqîme** her tarafım tutulmuş
**herçî** *nd* **1.** her kim ki **2.** hele, bir kere, ben şahsen ~ **çûn** giderek ~ **dîtina tawîs bivêt, divê germa hindê qebûl bike** gülü seven dikenine katlanır ~ **kesê hevalê qijikê be nikulê wî di gû de ye** rehberi karga olanın burnu boktan çıkmaz ~ **ku çû ji xwe wê ve çû** gittikçe kötüleşti
**herçîneş** *m* örülü örük ve kakül buklesi
**herdemciwan** *bot/m* herdem taze
**herdemcihan** *bot/m* herdem taze
**herdemî** *rd* sürekli, durucu
**herdevî** *bnr* hûrdevî
**here (I)** *b* git! ~ **ba civata mezinan rûne** (kendini) papucu büyüğe okutmak ~ **dera hanê** hadi ordan ~ **ji vê!** çek arabanı! (veya çek!), defol! ~ **ji wê!** defol! ~ **ku tu naçî** git gidebildiğin kadar ~ **lo (an jî wê de)** geç ulan (veya lan) ~ **riye navê de îcar bişon** sıçtı Cafer, bez getir ~ **tu naçî** git gidebildiğin kadar ~ **were** topu topu, olup olacağı * **jixwe here were yên zilam em her du bi tenê bûn** zaten topu topu ikimizdik erkek olarak ~ **wê de 1)** defol! **2)** haydi oradan (kovmak, azarlamak için kullanılır)
**here (II)** *m* testere
**herehereyî** *h* sonsuza dek
**herekat** *m* harekât
**hereke (I)** *m* **1.** hareket, devim **2.** hareket (belirli bir amaca varmak için birbiri ardınca yapılan ilerlemeler) * **herekeya azadiyê** özgürlük hareketi
**hereke (II)** *rz/m* hareke
**herekekirî** *rd* harekeli
**hereke lê danîn** *l/bw* harekelemek
**hereket** *m* **1.** hareket, devinim (bir cismin durumunun ve yerinin değişmesi) **2.** hareket (yola çıkma) * **du roj ma ji hereketkirina me re** hareketimize iki gün kaldı **3.** hareket (belirli bir amaca varmak için birbiri ardınca yapılan ilerlemeler)* **hereketa siyasî** siyasi hareket **4.** *sp* hareket **5.** *fel* hareket ~ **li ba bereket e** nerede hareket, orada bereket
**hereketkirin** *m* **1.** hareket etme, davranma **2.** hareket etme (vücudu oynatma, kıpırdatma, devinme) **3.** hareket etme, yola çıkma
**hereket kirin** *l/gh* **1.** hareket etmek, davranmak **2.** hareket etmek (vücudu oynatmak, kıpırdatmak, devinmek) **3.** hareket etmek, yola çıkmak
**herekeyî** *rd* devimsel
**herekeyîtî** *m* devimsellik
**herem (I)** *m* toprağı gevşek arazi
**herem (II)** *m* **1.** harem (saray ve konaklarda kadınlara ayrılan bölüm) **2.** harem (bu bölümde oturan kadınların hepsi)
**heremasî** *zo/h* testere balığı (Pristis pristis)
**heremgeh** *m* haremlik
**heremî** *rd* gevşekçe toprağa sahip arazi
**heremseray** *m* haremlik
**heremûk** *bnr* nêremo
**heres** *m* göçü
**hereşe** *m* tehdit
**hereşekirin** *m* tehdit etme
**hereşe kirin** *l/gh* tehdit etmek
**hereşe lê kirin** tehdit etmek
**hereşewarî** *h* tehditvari
**hereşo** *m* **1.** gürültü, patırtı * **mekin hereşo bila kes pê nehise** gürültü yapmayın kimse duymasın **2.** duyurma (herkesin haberdar olmasına neden olma) ~ **kirin 1)** gürültü patırtı yapmak **2)** duyurmak

**herewez** *m* **1.** angarya (ücretsiz yaptırılan iş) **2.** kooperatif
**herewezî** *rd* kolektif
**herewezîbûn** *m* kooperatifleşme
**herewezî bûn** *l/ngh* kooperatifleşmek
**herewezkar** *nd/nt* kooperatifçi
**herewezkarî** *m* kooperatifçilik
**herewezkî** *h* kooperatif şeklinde
**herez** *m* çığ ~ **hatin** çığ düşmek
**herf** *m* **1.** harf **2.** yazı (düşünceyi tespite yarayan işaretler, alfabe) * **herfên Erebî** Arap yazısı ~ **bi** ~ **1)** harfıyen **2)** harfı harfine ~**a biçûk** (an jî **hûrik)** küçük harf ~**a kelijandinê** *rz* kaynaştırma harfi ~**a navbirê** *rz* kaynaştırma harfi ~**ên gotîk** gotik harfler
**herfendaz** *rd* harfendaz (dokunaklı söz söyleyen, söz atan, takılan)
**herfendazî** *m* harfendazlık
**herê** *h* **1.** evet **2.** evet (konuşma arasında cümlenin olumlu anlamını pekiştirmek için de kullanılır) * **ez dê herim pê re bipeyîvim, pişt re jî herê** ...gidip onunla konuşacam, evet sonra da... **3.** hem, temam * **herê, çi bûye bi te** hem sana ne oluyor **4.** tamam, tamam mı? **5.** *b* ya (gereklik ve onay bildiren çümlelerde yargının onaylandığını bildirir) * **em jî bên? - herê hûn jî werin** biz de gelelim mi?-gelin ya **6.** ya (bilinen, görülen, hatırlanıp anlatılan bir olay sebebiyle de sorulan başka bir konu için kullanılır) * **we zikê xwe têr kir, herê ez çi bikim?** siz karnınızı doyurdunuz, ya ben neyapayım? ~ **baş e (lê)** iyi hoş (ama) ~ **herê (...), lê (...)** neyse ne * **herê herê mêr, lê jin!** erkekler neyse ne, ama kadınlar
**herêbûn** *m* onanma
**herê bûn** *l/ngh* onanmak
**herêkirin** *m* **1.** onaylama **2.** kız tarafının dönüre kız istemeye gelmelerine olur verme **3.** söz kesme
**herê kirin** *l/gh* **1.** onaylamak **2.** kız tarafının dönüre kız istemeye gelmelerine olur vermek **3.** söz kesmek ~**a xwe birîn** söz kesmek * **ji bo zewacê herêkirina xwe biriye** o evlenmek üzere söz kesmiş
**herêkirî** *rd* **1.** onaylı **2.** sözlü (söz kesilmiş olan, evlenmek için birine söz vermiş olan kız)
**herêm** *erd/m* **1.** bölge **2.** yöre **3.** nahiye, kuşak (yer yüzünün beş bölümünden her biri) **4.** *ast* kuşak (yer yüzünde veya herhangi bir gök cisminde belli şartları sağlayan bölge) **5.** *mat* kuşak (bir küre yüzeyi, paralel iki düzlemle kesildiğinde iki kesitin arasında kalan bölüm) ~**a asêkirî** müstahkem bölge ~**a bêalî** tarafsız bölge ~**a bêleşker** askersiz bölge ~**a çolterî** kırsal alan ~**a dil** kalp bölgesi ~**a erdhejê** deprem bölgesi ~**a germ** *erd* ısı kuşak ~**a gundewarî** kırsal alan ~**a hejekê (bivelerzê** an jî **erdhejê)** deprem bölgesi ~**a hilbijartinê** seçim çevresi ~**a hundirîn** *erd* iç bölge ~**a ji firînê re qedexekirî** uçuşa yasak bölge ~**a keşî** iklim kuşağı (veya bölgesi) ~**a nefirînê** uçuşa yasak bölge ~**a neftê** (an jî **petrolê**) petrol bölgesi ~**a pîlot** pilot bölge ~**a qedexe** yasak bölge ~**a qedexekirî** yasaklı bölge ~**a rewşa neasayî** olağanüstü hâl bölgesi
**herêmdar** *rd* bölgeli
**herêmdarî** *rd* bölgesel
**herêmgir** *rd/nd* bölgeci
**herêmgirî** *m* bölgecilik
**herêmî** *rd* bölgesel
**herêmîkirin** *m* bölgeselleştirme
**herêmî kirin** *l/gh* bölgeselleştirmek
**herêmîtî** bölgesellik
**herêmkî** bölgesel, bölgeselce
**herêmparêz** *rd/nd* bölgeci
**herêmparêzî** *m* bölgecilik
**herêmperest** *rd/nd* bölgeci
**herêmperestî** *m* bölgecilik
**herêna** *m* **1.** ikircilik, kararsızlık (düzensizlik, istikrarsızlık) **2.** belirsizlik **3.** *man* ikilem
**herênatî** *m* ikircik, teredüt
**herênayî** *m* ikirciklik, ikircik, teredüt,
**herênayîbûn** *m* ikirciklenme, kararsız olma
**herênayî bûn** *l/ngh* ikirciklenmek, kararsız olmak
**herêşandin** *m* fazla ezme
**herêşandin** *l/gh* fazla ezmek
**herêşîn** *m* fazla ezilme
**herêşîn** *l/ngh* fazla ezilmek
**herfiroş** *nd/nt* bakkal, market (bakaliye eşyası satılan yer)
**herfiyen** *h* harfiyen
**herfnivîsar** *m* tipograf
**herge** *bnr* eger
**hergele** *m* **1.** hergele (at, eşek sürüsü) **2.** *rd* hergele (terbiyesiz, görgüsüz kimse)
**hergeletî** *m/mec* hergelelik
**herhal** *h* **1.** her halde, kesinlikle **2.** elbet, elbette **3.** gerek (güçlü ihtimal belirtir) * **herhal ew bi tiştekî dizanin** bunların bir bildiği olsa gerek
**her halde** *h* her halde (büyük bir ihtimalle)
**herhitandin** *m* sürtme
**herhitandin** *l/gh* sürtmek
**herhitîn** *m* sürtülme
**herhitîn** *l/ngh* sürtülmek
**heridandin** *m* **1.** küstürme **2.** darıltma, gücendirme
**heridandin** *l/gh* **1.** küstürmek **2.** darıltmak, gücendirmek
**heridandî** *rd* **1.** küstürülmüş **2.** darıltılmış, gücendirilmiş olan
**heridî** *rd* **1.** kus **2.** dargın, darılmış küsmüş olan
**heridîn** *m* **1.** küsme **2.** darılma, gücenme

**heridîn** *l/ngh* 1. küsmek 2. darılmak, gücenmek (herhangi bir sebepten ötürü gücenip ilgiyi kesmek)
**herifan** *m* 1. yıkım 2. yıkma, kırıp dökme
**herifandin** *m* 1. yıkma, yıkış 2. göçertme 3. yıkma, kırıp dökme, tahrip etme
**herifandin** *l/gh* 1. yıkmak 2. göçertmek 3. yıkmak, kırıp dökmek, tahrip etmek
**herifandî** *rd* 1. yıkık 2. çökkün
**herifî** *rd* 1. yıkık 2. çökkün
**herifîn** *m* 1. yıkılma, yıkılış 2. göçme, göçüş 3. yığılma (düşme) 4. çökme, çöküş (vücut, akıl, ruhça gücü azalma) 5. çökme (son bulma)
**herifîn** *l/ngh* 1. yıkılmak * **dîwar herifî** duvar yıkıldı 2. göçmek 3. yığılmak (düşmek) * **jinik herifî erdê** kadın yere yığıldı 4. çökmek (vücut, akıl, ruhça gücü azalmak) * **mêrikê belengaz êpê herifîbû** adamcağız epey çökmüştü * **kalekî herifîbû** çökmüş bir yaşlıydı 5. çökmek (son bulmak) * **Împeratoriya Bîzans di 1453'yan de herifî** Bizans İmparatorluğu 1453'te çöktü
**herifîna damarî** *bj/nd* sinir argınlığı
**herifîner** *rd* yıkıcı, tahripkâr
**herifînerî** *m* yıkıcılık, tahripkârlık
**heriftin** *m* 1. yıkma, yıkış 2. çökme, göçerme 3. yıkma, kırıp dökme, tahrip etme
**heriftin** *l/gh* 1. yıkmak 2. çökmek, göçermek 3. yıkmak, kırıp dökmek, tahrip etmek
**heriftî** *rd* 1. yıkık 2. çökkün
**heriftîbûn** *m* çökünlük
**herijandin** *m* parçalama
**herijandin** *l/gh* parçalamak (parçalara ayırmak)
**herijîn** *m* parçalanma
**herijîn** *l/ngh* parçalanmak
**herik (I)** *b* vay be
**herik (II)** *b* kuzu kovma ünlemi
**herik (III)** *m* akım, cereyan
**herikan** *m* 1. akım, akma işi 2. akıntı, akma (sıvı şeyler için) * **herikana avê** suyun akıntısı 3. akım, cereyan
**herikandin** *m* akıtma
**herikandin** *l/gh* akıtmak
**herikandî** *rd* akıtılmış olan
**herikbar** *rd* 1. akıcı, akışkan (akma özeliği olan) 2. *wj* akıcı (söz)
**herikbarî** *m* akıcılık
**herikbarkî** *h* 1. akıcıca 2. kıvrakça
**herikdar** *rd* akımlı, cereyanlı
**herikiya lerzokî** *rz/nd* titreşimli akıcı ses
**herikiya rexkî** *rz/nd* akıcı yan önsüz
**herikîn** *m* 1. akma, akış (sıvı maddeler için) 2. akma (aşağıya, yere düşme) 3. akma, cereyan etme
**herikîn** *l/ngh* 1. akmak (sıvı maddeler için) * **berê av di vir de herikiye** eskiden su burdan akıyormuş 2. akmak (aşağıya, yere düşmek) 3. akmak, cereyan etmek
**herikîtî** *m* akıcılık
**herik kirin** *l/gh* kuzu kovmak
**herikok** *rd* akıcı, akışkan
**herikoyî** *rd* akıcı (akma özeliği olan)
**herimandin** *m* 1. berbat etme, berbat eyleme (kötü duruma getirme) 2. batırma (kirletme) 3. başını gözünü yarına (bir işi istendiği gibi yapmama, kötü yapma)
**herimandin** *l/gh* 1. berbat etmek, berbat eylemek (kötü duruma getirmek) 2. batırmak (kirletmek) 3. başını gözünü yarmak (bir işi istendiği gibi yapmamak, kötü yapmak) * **birayê min, te ev kar herimandiye** kardeşim sen bu işin başını gözünü yardın
**herimandî** *rd* 1. berbat edilmiş, berbat eylenmiş olan 2. batırılmış, kirletilmiş olan 3. başını gözünü yarılmış (bir iş istendiği gibi yapılmamış, kötü yapılmış)
**herimî** *rd* 1. berbat olmuş olan 2. batık, batmış, kirlenmiş olan ~ **terimî** berbat, batık
**herimîn** *m* 1. berbat olma 2. batma, kirlenme
**herimîn** *l/ngh* 1. berbat olmak 2. batmak (kirlenmek) * **şalê min herimiye** pantolonum batmış
**herimolo** *m* aforoz ~ **bûn** aforoz olmak ~ **kirin** aforoz etmek
**herimolobûn** *m* aforoz olma, aforozlanma
**herimolo bûn** *l/ngh* aforoz olmak, aforozlanmak
**herimolobûyîn** *m* aforoz oluş, aforozlanış
**herimolokirin** *m* 1. aforoz etme, aforozlama 2. aforoz etme (darılıp biriyle konuşmama, ilgiyi kesip uzaklaştırma)
**herimolo kirin** *l/gh* 1. aforoz etmek, aforozlamak 2. aforoz etmek (darılıp biriyle konuşmamak, ilgiyi kesip uzaklaştırmak)
**herimolokirî** *rd* aforozlu, aforoz edilmiş olan
**herin** *l/ngh* gitmek (çûn, fiilinin kuralsız halı; emir kipi, şimdiki zaman ve gelecek zaman gbi durumlarda kulanılır) * **here ba civata mezinan rûne** (kendini) papucu büyüğe okutmak * **here dera hanê** hadi ordan * **here ji vê!** çek arabanı! (veya çek!), defol! * **here ji wê!** defol! * **here ku tu naçî** git gidebildiğin kadar * **here lo (an jî wê de)** geç ulan (veya lan) * **here riye navê de îcar bişon** sıçtı Cafer, bez getir * **here tu naçî** git gidebildiğin kadar * **here were** topu topu, olup olacağı * **jixwe here were yên zilam em her du bi tenê bûn** zaten topu topu ikimizdik erkek olarak * **here wê de** 1) defol! 2) haydi oradan (kovmak, azarlamak için kullanılır)
**herin** *b* gidin ~ **bibêjin** varın söyleyin, gidin söyleyin
**herisan** *m* sindirme, hazım
**herisandin** *m* 1. sindirme, sindiriş, hazmetme 2. ezme
**herisandin** *l/gh* 1. sindirmek, hazmetmek 2. ezmek

**herisîn** *m* **1.** sindirilme, hazmedilme **2.** ezilme
**herisîn** *l/ngh* **1.** sindirilmek, hazmedilmek **2.** ezilmek
**heristandin** *m* ufalama
**heristandin** *l/gh* ufalamak
**heristin (I)** *m* **1.** dolanma (bir şeyin çevresine sarılma) **2.** sarmaş dolaş olma
**heristin (II)** *m* ezme
**heristin (III)** *m* kolonileşme
**heristin (I)** *l/ngh* **1.** dolanmak (bir şeyin çevresine sarılmak) **2.** sarmaş dolaş olmak
**heristin (II)** *l/gh* ezmek
**heristin (III)** *l/ngh* kolonileşmek
**herişan (I)** *m* tahriş
**herişan (II)** *m* yıkım
**herişandin (I)** *m* tahriş etme
**herişandin (II)** kışkırtma, çıkışma
**herişandin (III)** *m* **1.** yıkma, yıkış **2.** ufalama, dağıtma
**herişandin (I)** *l/gh* tahriş etmek
**herişandin (II)** *l/gh* kışkırtmak **3.** çıkışmak
**herişandin (III)** *l/gh* **1.** yıkmak **2.** ufalamak, dağıtmak
**herişîn (I)** *m* tahriş olma
**herişîn (II)** *m* **1.** kışkırtılma **2.** çıkışma **3.** biriyle soğuk ve hoş olmayan bir üslupla konuşma **4.** takılma (şaka yoluyla birine takılma)
**herişîn (III)** *m* **1.** yıkılma **2.** ufalanma, dağılma (parçalanarak yayılma)
**herişîn (I)** *l/ngh* tahriş olmak 1
**herişîn (II)** *l/ngh* **1.** kışkırtılmak **2.** çıkışmak * **ez herişîm wî** ona bir çıkıştım **3.** biriyle soğuk ve hoş olmayan bir üslupla konuşmak **4.** takılmak (şaka yoluyla birine takılmak) ~ **(yekî)** birine çıkışmak ~ **hev** itişip kakışmak
**herişîn (III)** *l/ngh* **1.** yıkılmak **2.** ufalanmak, dağılmak (parçalanarak yayılmak)
**herişî** *rd* **1.** dağılmış olan **2.** halsiz, bitkin
**herivan** *m* **1.** yıkma **2.** çökme, çöküntü
**herivandin** *m* **1.** yıkma **2.** çöktürme **3.** göçürtmek
**herivandin** *l/gh* **1.** yıkmak **2.** çöktürmek **3.** göçürtmek
**herivandî** *rd* **1.** yıkık **2.** çökük **3.** göçük
**herivên** *bnr* herifîn
**herivger** *rd* yıkıcı
**herivîn** *m* **1.** yıkılma, çökme (üzerinde bulunduğu yere yıkılma) **2.** göçme, göçürme **3.** çökme (vücut, akıl, ruhça gücü azalma) **4.** çökme (son bulma) **6.** yığılıp kalma
**herivîn** *l/ngh* **1.** yıkılmak, çökmek (üzerinde bulunduğu yere yıkılmak) **2.** göçmek, göçürmek **3.** çökmek (vücut, akıl, ruhça gücü azalmak) * **mêrikê belengaz êpê herifîbû** adamcağız epey çökmüştü **4.** çökmek (son bulmak) * **Îİmperatoriya Bîzans di 1453'yan de herivî** Bizans İmparatorluğu 1453'te çöktü **6.** yığılıp kalmak
**herivtin** *bnr* heriftin

**heriyokî** *h* çamurumsu, çamur gibi
**heriyokîbûn** *m* çamurlaşıma
**heriyokî bûn** *l/ngh* çamurlaşımak
**heriyokîbûyîn** *m* çamurlaşma
**herizandin** *m* dokundurma, bulaştırma, eleştirme
**herizandin** *l/gh* dokundurmak, bulaştırmak, eleştirmek
**herizîn** *m* dokunma, bulaşma, eleşme, karışma
**herizîn** *l/ngh* dokunmak, bulaşmak, eleşmek, karışmak * **bi min meherize tê jovan bibî** bana bulaşma pişman olursun * **pê mehelize** ona eleşme
**herî (I)** *b* kuzu kovma ünlemi
**herî (II)** *m* **1.** çamur **2.** çamur (yapı işlerinde kullanılan harç) ~**ya zeliqok** özlü çamur
**herî (III)** *h* en (başına geldiği sıfatların en üstün derecede olduğunu gösterir) * **herî mezin** en büyük ~ **biçûk** en küçük ~ **dawî** en son ~ **girîng 1)** en önemli **2)** can alıcı ~ **jêr** en aşağı ~ **kêm 1)** en eksik **2)** en aşağı * **her daîre herî kêm sê odayê wê hene** her daire en aşağı üç odalı ~ **ku ez pê dizanim** bildim bileli (veya bildik bileli) ~ **mezin** en büyük ~ **xwarin herî avêtin** yiyeceği kadar almak ~ **zêde 1)** en fazla **2)** en fazla, en çok, çok çok, bilemedin (veya bilemediniz) * **ev kar herî zêde du seat biajo** bu iş çok çok iki saat sürer ~ **zû 1)** en erken **2)** en erken, ancak * **balafir herî zû sibehê dikare bê** uçak ancak yarın gelebilir
**herîk** *m* kaynatılan şiranın dibinde kalan çamurlu tortu
**herî kirin** *l/gh* kuzu kovmak
**herî lê ketin** *l/bw* çamurlanmak
**herîparêz** *m* çamurluk (paçaları korumlak için giyilen tozluk)
**herîr (I)** *bnr* helîlik
**herîr** *n* **1.** harir, ipek **2.** *rd* harir, ipek (ipekten yapılmış olan)
**herîrî** *rd* ipekli (ipekten yapılmış olan)
**herîs** *rd* haris, aç gözlü, hırslı
**herîş** *m* saldırı
**herîşan** *rd* becerikli, çalışkan (her işe koşan, çalışkan becerikli kimse)
**herîşandin** *m* tahriş etme
**herîşandin** *l/gh* tahriş etmek
**herîşanî** *m* beceriklilik, çalışkanlık
**herîşdan** *m* saldırma
**herîşdan** *l/gh* saldırmak
**herîşdar** *nd/nt* saldırgan
**herîşdarî** *m* saldırganlık
**herîşîn** *m* tahriş olma
**herîşîn** *l/ngh* tahriş olmak
**herîşk** *m* zengin minerallı su batağı, şifalı çamur
**herîşkar** *nd/nt* saldırgan
**herîşkarî** *m* saldırganlık
**herî tê dan** *l/bw* çamurlamak

**herî tê gerîn** *l/bw* çamurlanmak
**herî zû** *h/g* en erken, ancak * **balafir herî zû sibehê dikare bê** uçak ancak yarın gelebilir
**herk** *m* **1.** akım, akış **2.** akıntı **3.** akım, cereyan ~**a karebayê** (an jî **elektrik**) elektrik akımı
**herkdar** *rd* akıntılı
**herke** *bnr* eger
**her kes** *nd* **1.** (bütün varlıklar) * **mirin li serê her kesî ye** ölüm herkesin başında **2.** herkes (olur olmaz kimseler, önüne gelen) * **ev ne karê her kesî ye ku bike** bu, herkesin yapacağı iş değil
**her kişkiş** *b* köpeğe saldırı emri
**herkî** *m* bir halı ismi
**herkoyî** *rd* **1.** akıcı, akan **2.** *fiz* akışkan
**herkoyîbûn** *m* akışkanlaşma
**herkoyî bûn** *l/ngh* akışkanlaşmak
**herkoyîbûnî** *m* akışkanlık
**hermanî** *m* harmani, harmaniye
**hermel** *m* **1.** üzelik (nazara karşı koruduğuna inanılır) **2.** *bot* bir bitki adı
**hermet** *m* bayan, hanım (nezaket icabi)
**hermî** *bot/m* **1.** armut (Pirus Communis) **2.** armut (bu ağacın meyvesi)
**hermo** *bot/m* bir armut türü
**hermonî** *m* afaroz
**hermonîbûn** *m* afaroz olma, aforozlanma
**hermonîbûn** *l/ngh* afaroz olınak, aforozlanmak
**hermonîkirin** *m* afaroz etme, aforozlama
**hermonî kirin** *l/gh* afaroz etmek, aforozlamak
**hermonîkirî** *rd* aforozlu
**hermûş** *n* **1.** ipek **2.** *rd* ipek (ipekten yapılmış olan)
**herone** *m* günlük rutin iş
**heroyî** *m* günlük rutin iş
**herrojî** *rd* gündelik (her günkü)
**hers (I)** *m* sindirim, hazım
**hers (II)** *rd* sıradan, bayağı
**her sibeh** *h* sabahları, her sabah
**hersim** *n* koruk
**herşe** *m* dilim, parça
**her şev** *h* geceleri * **her şev dest pê dikir ji xwe re digiriya** geceleri ağlar dururdu geceleri
**her tim** *h* hep, sürekli, daima * ez her tim li te diramim hep seni düşünüyorum
**hertz** *fiz/m* hertz (fizikçiHeinrich Hertz'ın adından)
**herûg** *m* erik
**herûher** *h* ilelebed
**herûm** heywana herûm
**herûm** *rd* **1.** serkeş **2.** eve uğramayan evcil hayvan
**herûmî** *bnr* herûm
**herûmî bûn** *l/ngh* **1.** serkeş olmak **2.** eve uğramamak (evcil hayvan icin)
**herûmî kirin** *l/gh* serkeş olmasına sebep olmak
**hervîşim** *bnr* hevrîşim
**hermandin** *bnr* herwandin
**herwandin** *m* başarısız kılma
**herwandin** *l/gh* başarısız kılmak
**herwandî** *rd* başarısız kılınmış olan
**herwanî** *m* geniş ve kısa kollu kısa kürk
**herwe** *rd/h* bedava, beleş
**herwedîtin** *m* kabartma, rölyef
**herwîn** *m* başarısız olma
**herwîn** *l/ngh* başarısız olmak
**herwîşim** *bnr* hevrîşim
**herz (I)** *m* batak, bataklık
**herz (II)** *m* hazım
**herzal** *h* her halde, kesinlikle
**herzalik** *m* kır evi, kulübe
**herze** *m* boş söz, saçma sapan söz
**herzeg** *rd* düzensiz, intizamsız
**herzegî** *m* düzensizlik
**herzekar** *rd* **1.** baliğ, buluğ, ergin **2.** aylak **3.** boş şeylerle uğraşan, saçma sapan konuşan
**herzekarbûn** *m* baliğ olma, bulûğa erme
**herzekar bûn** *l/ngh* baliğ olmak, bulûğa ermek
**herzandin** *m* sindirme, hazmetme
**herzandin** *l/gh* sindirmek, hazmetmek
**herzing** *m* hıçkırık (ağlarken çıkan ses) ~ **anîn (yekî)** hıçkırtmak ~ **anîn xwe** hıçkırmak ~ **hatin (yekî)** (birini) hıçkkırık tutmak ~ **jê çûn** hıçkırmak ~ **pê girtin** (birini) hıçkkırık tutmak
**herzîn** *m* sindirilme, hazmedilme
**herzîn** *l/ngh* sindirilmek, hazmedilmek
**hes** *m* **1.** his, duygu **2.** ses soluk ~ **vêneketin** sesi soluğu çıkmamak
**hesa (I)** *m* heyelân
**hesa (II)** *n* pay, hisse ~**yê karê** kâr hissesi ~**a xwe jê hilanîn** hisse çıkarmak, pay çıkarmak
**hesab** *n* **1.** hesap (aritmetik) **2.** hesap (matematiksel işlem) **3.** hesap (alacaklı ve borçlu olma durumu) * **li bankayê hesabê min heye** bankada hesabım var **4.** hesap (ödenecek ücretin miktarı) * **rahêjê pênûsê hesabê min derxe** al eline kalemi hesablarımı görüver **5.** hesap (oranlama, tahmin) * **li gor hesabê min ev qumaş dê têrî kiras neke** benim hesabıma göre bu kumaş entariye yetmeyecek **6.** hesap (bir girişimin, bir işin başarıya ulaşması için alınan tedbirlerin tümü) * **hemû hesab têk çûn** bütün hesablar bozuldu **7.** hesap (tutum, anlayış veya durum anlamlarında) * **ê te jî ew hesab, hema lê bixin** seninki de vur hesabı ~ **bi hev re dîtin 1)** hesaplaşmak (alacak vereceklerini hesaplamak) **2)** *mec* ödeşmek ~ **dan** hesap vermek (veya hesabını vermek) ~ **derxistin** hesap çıkarmak ~ **girtin** hesap tutmak ~ **ji hev pirsîn** hesaplaşmak (tartışarak, düşünerek bir yargıya varmak, kozlarını paylaşmak) ~

**kirin 1)** hesap etmek (bir işin kazancıyla giderini karşılaştırarak bir sonuca varmak) **2)** hesap etmek (düşünmek, tasarlamak) ~ **kirin kîsab kirin** hesap etmek, kitap etmek ~ **kîsab** hesap kitap ~ **pê re dan dîtin** hesap sormak (birini veya birilerini yanlış ve uygunsuz işlerinden dolayı sorguya çekmek) ~ **pirsîn** hesap sormak ~ **û kîsab** hesap kitap ~ **û kîsabên xwe zanîn** hesabını (kitabını) bilmek ~ **vekirin 1)** hesap açmak (banka; gereğinde çekilmek üzere yatırılan para için işlem yapmak) **2)** hesap açmak (birine borçlanma imkanı tanımak) **~ek li deynê (yekî) nivîsandin** (bir hesabı birinin) zimmetine geçirmek **~ê bêmawe** vadesiz hesab **~ê bêwade** vadesiz hesap (veya mevduat) **~ê bimawe** (an jî **biwade)** vadeli hesap (veya mevduat) **~ê (tiştekî) dan** hesap vermek, hesabını vermek (herhangi bir davranışın sebebini açıklamak, anlatmak) **~ê (yekî) dan dîtin 1)** hesabını görmek (alacağını verip ilişkisini kesmek) **2)** hesabını görmek (cezalandırmak) **~ê (yekî) danê** hesabını vermek **~ê (yekî) di zikê (wî) de ye** içinden (veya içten) pazarlıklı **~ê ebcedê** *wj* ebcet hesabı **~ê (yekî) girtin** hesabını kapamak **~ê întegralê** *mat* integral hesabı **(bi) ~ê jimaran** sayı hesabıyla **~ê (...) kirin** hesabını etmek, hesaba katmak **~ê ku (yek) kirin tev çûn** hayalleri suya düşmek **~ê mal û bazarê** (an jî **sûkê) li hev derneketin** evdeki pazar (veya hesap) çarşiya uymamak **~ê mal û çarşiyê li hev nenihêrtin** evdeki pazar (veya hesap) çarşiya uymamak **~ê mawedar** vadeli hesap **~ê (tiştekî) neribûn** hesapta olmamak **~ê paşî kirin** tartmak (bir şeyin bütün sonuçlarını düşünmek) **~ê paş û pêşiya xwe nekirin** baştankara gitmek **~ê paşiya xwe nekirin** akşamdan kavur, sabaha savur **~ê paşî û pêşiya xwe kirin** hesabını (kitabını) bilmek **~ê paşî û pêşiya xwe nake** önüne arkasına bakmadan **~ê pêş û paş nekirin** ilerisini gerisini hesaplamamak (veya düşünmemek) **~ê pêşiya xwe kirin** ilerisini düşünmek **~ê qafa** zihin hesabı **~ê şaş ji vir û Şamê vedigere** yanlış hesab Bağdad'dan döner **~ê tiliyan** (an jî **destan)** parmak hesabı **~ê wadedar** vadeli hesap **~ê xwe dîtin** hesap görmek **~ên xwe jê birîn** (biriyle) hesabı kesmek **~ên îhtimalî** ihtimaller hesabı

**hesabdar** *nd/nt* **1.** hesap uzmanı **2.** sayman, muhasip, muhasebeci **3.** *rd* hesaplı

**hesabdarî** *m* **1.** hesap uzmanlığı **2.** saymanlık, muhasiplik, muhasebecilik **3.** matematik

**hesabgêr** *nd/nt* sayman, muhasebeci, muhasip

**hesabgêrîtî** *m* saymanlık, muhasebecilik, muhasiplik

**hesabgir** *nd/nt* sayman

**hesabgirî** *m* saymanlık

**hesabkar** *rd* hesaplayıcı

**hesabkarî** *m* hesaplayıcılık

**hesabker** *rd* hesaplayıcı

**hesabkerî** *m* hesaplayıcılık

**hesabkirin** *m* **1.** hesaplamak, hesap etme **2.** *mec* hesaplama, hesap etme (bir şeyi, bir durumu ayrıntılı bir biçimde düşünme) **3.** sayma (hesaba katma, dikkate alma) **4.** sayma (geçer tutma) **5.** sayma (herhangi bir sıraya koyma, herhangi bir sırada yer aldığını kabul etme) **6.** var sayma, farzetme **7.** borca sayma, tutma

**hesab kirin** *l/gh* **1.** hesaplamak, hesap etmek **2.** *mec* hesaplamak, hesap etmek (bir şeyi, bir durumu ayrıntılı bir biçimde düşünmek) * **der heqê kar de her tiştî hesab kiribû** işle ilgili her şeyi hesaplamıştı **3.** saymak (hesaba katmak, dikkate almak) **4.** saymak (geçer tutmak) * **ez hatina we ya vê carê hesab nakim** bu seferki gelişinizi saymıyorum **5.** saymak (herhangi bir sıraya koymak, herhangi bir sırada yer aldığını kabul etmek) * **êdî em dikarin hesab bikin ku zivistan çû derbas bû** artık kışın geçtiğini sayabiliriz **6.** var saymak, farzetmek **7.** borca saymak, tutmak * **ez vê li deynê we hesab dikim** bunu borcunuza tutuyorum

**hesabkirî** *rd* **1.** hesaplı, hesaplanmış olan **2.** *mec* plânlı, hesaplı

**hesabkirîbûn** *m* **1.** hesaplılık **2.** plânlılık

**hesabnekirî** *rd* **1.** hesapsız * **ket nav karekî hesabnekirî** hesapsız bir işe girişti **2.** *mec* plânsız, hesapsız

**hesabzan** *nd/nt* hesap uzmanı

**hesabzanî** *m* hesap uzmanlığı

**hesadar** *rd* hissedar, hisseli, paydaş

**hesadarî** *m* hissedarlık, paydaşlık

**hesamî** *m* zelve

**hesan (I)** *n* bileği taşı ~ **û stro** bileyi takımı, bileyi taşı ve boynuzdan yağdanlık

**hesan (II)** *m* duyma

**hesandin** *bnr* hisandin

**hesankirin** *m* bileme

**hesan kirin** *l/gh* bilemek

**hesar (I)** *m* **1.** hisar, kale **2.** geçit vermeyen dağ bölümü **3.** *mec* çember (kıstırma) * **me ew kirin hesarê** onu çembere aldık

**hesar (II)** *m* üzüm sıkma eylemi

**hesare** *ast/m* gezegen

**hesaregeh** *ast/m* planetaryum

**hesarkirin** *m* çembere alma

**hesar kirin** *l/gh* çembere almak

**hesarkirî** *rd* mahsur, sarılmış

**hesas (I)** *nd* gece bekçisi

**hesas (II)** *rd* **1.** hassas (duyum ve duyguları algılayan) **2.** hassas, duygun, duyarlı, içli (çabuk duygulanan) **3.** hassas (çabuk etkilenen) **4.** hassas (yapımı ve bakımı özen isteyen, aksamadan çok doğru çalışan, kesin işlerde kul-

lanılan alet) * **terazûya hesas** hassas terazi
**hesasbûn** *m* **1.** hassasleşme **2.** mec hassasleşme, nazikleşme
**hesas bûn** *l/ngh* **1.** hassasleşmek **2.** mec hassasleşmek, nazikleşmek
**hesasî (I)** *m* gece bekçiliği
**hesasiyet** *m* hassasiyet, duygunluk, duyarlılık
**hesasî (II)** *m* hassaslık, hassasiyet, duyarlılık
**hesaskirin** *m* hassasleştirme, duyarlılaştırma
**hesas kirin** *l/gh* hassasleştirmek, duyarlılaştırmak
**hesaskirî** *rd* hassasleştirilmiş, duyarlılaştırılmış olan
**hesav** *bnr* hesab
**hesenî** *m* bir üzüm türü
**hesêbanî** *h* faraza, farzetki, tutki
**hesêbankî** *h* faraza, farzetki * **hesêbankî ku haya we jê tune bûye ku ev tişt hatiye kirin, hûn çi dihizirin?** faraza sizin haberiniz olmadan bu iş yapıldı, ne düşünüyorsunuz?
**hesêbgir** *nd/nt* sayman, muhasip, muhasebeci
**hesêbgirî** *m* **1.** saymanlık, muhasebecilik **2.** muhasebe
**heshes** *nd* gece bekçisi
**heshesî** *m* gece bekçiliği
**heshesûk** *bot/m* **1.** keçi boynuzu (Caratonia siliqua) **2.** keçi boynuzu (bu ağacın yemişi)
**hesibandin** *m* **1.** hesaplama **2.** hesap etme (bir işin kazancıyla giderini karşılaştırarak bir sonuca varma) **3.** sayma (hesaba katma, dikkate alma) **4.** sayma (herhangi bir sıraya koyma, herhangi bir sırada yer aldığını kabul etme) **5.** addedilme **6.** sanma (bir şey veya kimsenin ... olduğunu düşünme) **8.** sayma, ithaz etme, ... olarak görme **9.** sayınak, önem verme
**hesibandin** *l/gh* **1.** hesaplamak **2.** hesap etmek (bir işin kazancıyla giderini karşılaştırarak bir sonuca varmak) **3.** saymak (hesaba katmak, dikkate alınak) * **ma yên ku min berê dabûn qey tu nahesibînî?** daha önce verdiklerimi saymıyor musun? **4.** saymak (herhangi bir sıraya koymak, herhangi bir sırada yer aldığını kabul etmek) * **êdî em dikarin bihesibînin ku zivistan çû derbas bû** artık kışın geçtiğini sayabiliriz **5.** addedilmek * **ez vê wekî ku nebûbe dihesibînim** bunu olmamış olarak addediyorum **6.** sanmak (bir şey veya kimsenin ... olduğunu düşünmek) * **ev zilam xwe bi çi dihesibîne?** bu adam kendini ne sanıyor? **8.** saymak, ithaz etmek, ... olarak görmek * **ez gotina we wekî senedê ji xwe re dihesibînim** sözünüzü senet olarak ittihaz ediyorum **9.** saymak, önem vermek
**hesibandî** *rd* **1.** hesaplanmış olan **2.** mahsup, hesap edilmiş, hesaba geçirilmiş
**hesibîn** *m* **1.** hesaplanma **2.** sayılma
**hesibîn** *l/ngh* **1.** hesaplanmak **2.** sayılmak
**hesidandin** *m* kıskandırma
**hesidandin** *l/gh* kıskandırmak
**hesidîn** *m* kıskanma
**hesidîn** *l/ngh* kıskanmak
**hesikandin** *m* **1.** bulama, beleme **2.** bulaştırma, sıvaştırma, sıvama (sıvar gibi bulaştırma) **3.** batırma (kirletme)
**hesikandin** *l/gh* **1.** bulamak, belemek * **zarok ser û çavên xwe di heriyê de hesikandiye** çocuk üstünü başını çamura bulamış **2.** bulaştırmak, sıvaştırmak, sıvamak (sıvar gibi bulaştırmak) * **zarok rûyê xwe bi rîçalê hesikandiye** çocuk yüzünü reçel ile sıvamış **3.** batırmak (kirletmek)
**hesikandî** *rd* **1.** bulanmış **2.** bulaştırılmış, sıvaştırılmış **3.** batırılmış, kirletilmiş olan
**hesikî** *rd* **1.** belenmiş, bulanmış, bulaşık, bulaşmış **2.** batmış, kirlenmiş olan
**hesikîn** *m* **1.** belenme, bulanma **2.** bulaşma, sıvaşma **3.** batma (kirlenme)
**hesikîn** *l/ngh* **1.** belenmek, bulanmak * **ez di heriyê de hesikîm** çamura bulandım **2.** bulaşmak, sıvaşmak **3.** batmak (kirlenmek)
**hesik** *n* hasan (isim) * **hesiko ji bajêr xeyîdiye** tavşan dağa küsmüş dağın haberi yok
**hesikoyî** *rd* sıvışık
**hesilandin** *m* **1.** imrendirme **2.** muhtaç etme
**hesilandin** *l/gh* **1.** imrendirmek **2.** muhtaç etmek
**hesilîn** *m* **1.** imrenme **2.** muhtaç olma
**hesilîn** *l/ngh* **1.** imrenmek * **dihesilîne wî** ona imrenmek **2.** muhtaç olmak
**hesin** *kîm/n* **1.** demir (kısaltması Fe) **2.** demir (bazı nesnelerin demirden yapılmış parçası) * **hesinê derî** kapı demiri **3.** demir (ayakkabı topuğuna veya buruna aşınmaması için çakılan parça) **4.** *rd* demir (demirden yapılmış) ~ **avêtin ber piyan** ayağına sıcak su mu, soğuk su mu dökelim? ~ **bi germî ditewe** demir tavında dövülür ~ **bi nermî ditewe** demir tavından dövülür ~ **bi sarî ba dan** güçlü olmak, zorba olmak ~ **bi sarî naçeme** demir tavından dövülür ~ **bi sarî natewe** demir tavında dövülür ~ **bi sarî tewandin** zorbalık etmek ~ **bi sarî xwar kirin (tewandin an jî cûtin)** güçlü olmak, zorba olmak ~ **li berê xistin** demirlemek * **piştî ku min hesin li ber pencereyê xist dilê min rihet bû** pencereleri demirledikten sonra içim rahatladı ~ **nermenerm ditewe** emir tavından dövülür **~ê arêxê** özek demiri **~ê coş** dökme demir **~ê daweribandî** çekme demir **~ê goşeyî** köşebent demir **~ê kutayî** ak demir **~ê nêr** (an jî **sirt**) erkek demir **~ê xwe kutan** dediğinde diretmek
**hesinbazû** *rd* demirbilek
**hesinbûn** *m* demirleşme
**hesincaw** *n* demir aksam, araç gereç
**hesindar (I)** *bot/m* meşe familyasından sert bir ağaç türü

**hesindar (II)** *rd* demirli * **ava hesindar** demirli su
**hesindiz** *m* mıknatıs
**hesindizîkirin** *m* mıknatıslama
**hesindizî kirin** *l/gh* mıknatıslamak
**hesindizîtî** *m* mıknatıslık, mıknatısiyet
**hesinfir** *m* mıknatıs
**hesinfiroş** *nd/nt* demirci (demir satan)
**hesinfiroşî** *m* demircilik
**hesinger** *nd/nt* demirci
**hesingerî** *m* demircilik
**hesinî** *rd* demir (demirden yapılmış) * **kursiyê hesinî** demir kürsü
**hesinkar** *nd/nt* demirci
**hesinkarî** *m* demircilik
**hesinker** *nd/nt* demirci
**hesinkerî** *m* demircilik
**hesinkêş** *m* mıknatıs
**hesinkir** *nd/nt* demirci (demir satın alan)
**hesinkirin** *m* demirleme
**hesin kirin** *l/gh* demirlemek
**hesinkirî (I)** *m* demircilik (satın alma işi)
**hesinkirî (II)** *rd* demirlenmiş, demirli * **paceya hesinkirî** demirli pencere
**hesinsaz** *nd/nt* çilingir
**hesinsazî** *m* çilingirlik
**hesinxane** *m* demirhane
**hesiran** *m* ezme, sıkma
**hesirandin** *m* **1.** ezme **2.** sıkma (basınçla yağını, suyunu, sıvısını çıkarıp akıtma)
**hesirandin** *l/gh* **1.** ezmek * **tirî hesirand** üzümü ezdi **2.** sıkmak (basınçla yağını, suyunu, sıvısını çıkarıp akıtmak) * **tirî hesirand** üzümü sıktı
**hesirandî** *rd* **1.** ezik **2.** sıkılmış
**hesirî** *rd rd* **1.** ezik **2.** sıkılmış
**hesirîn** *m* **1.** ezilme **2.** sıkılma, sıkılış
**hesirîn** *l/ngh* **1.** ezilmek **2.** sıkılmak (üzüm sıkılması gibi)
**hesisandin** *m* dinletme
**hesisandin** *l/gh* dinletmek
**hesisîn** *m* dinleme
**hesisîn** *l/ngh* dinlemek * **stran dihesisî** şarkı dinliyordu
**hesiyet** *m* haysiyet, onur
**hesîd** *rd* kıskanç
**hesîd** *m* kıskançlık
**hesîde** *m* un, yağ, şeker (bazen pekmez) ile yapılan bir tür mühalebi
**hesîke** *m* bir tür tüfek
**hesîn** *bnr* hisîn
**hesîne** *m* **1.** dinleme, istirahat **2.** dinlence
**hesînebûn** *m* dinlenme
**hesîne bûn** *l/ngh* dinlenmek
**hesînekirin** *m* dinlendirme, istirahat etme
**hesîne kirin** *l/gh* dinlendirmek, istirahat etmek
**hesînekirî** *rd* dinlenmiş, istirahat etmiş olan
**hesîr** *m* **1.** hasır (saz dan yapılmış yaygı) **2.** *rd* hasır (tamamı veya bir kısmı hasırdan olan)
**hesîrfiroş** *nd/nt* hasırcı (satan kimse)
**hesîrfiroşî** *m* hasırcılık
**hesîrker** *nd/nt* hasırcı (yapan kimse)
**hesîrkerî** *m* hasırcılık
**hesîrkirin** *m* hasırlama
**hesîr kirin** *l/gh* hasırlamak
**hesîrkirî** *rd* hasırlı
**hesk** *m* **1.** kepçe (sulu yemekleri karıştırmaya, dağıtmaya yarayan, uzun saplı derince kaşık) **2.** çemçe **3.** *rd* kepçe (bir kepçenin alacağı miktar) ~**a darîn** çömçe ~**a destîdirêj** uzun saplı kepçe ~**a hemû giraran** her aşın kaşığı, kel kâhya ~**a hirçê** kepçe şeklindeki korkuluk ~**a her girarî** her şeye maydanoz
**heskîf** *m* gelberi
**heskok** *m* kepçe
**heskû** *m* kepçe
**hesp** *zo/n* **1.** at **2.** at (satrançta) ~ **avêtin ber (yekî)** at oynatmak (yarışmak) ~ **carekê di cuherê vala de tê girtin** insan bir sefer faka basar ~ **çûn wek birûska ji esman datê** yıldırım gibi koşmak ~ **dan (yekî)** atlandırmak, ata bindirmek ~ **heye afir tune ye, afir heye ~ tune ye** at olur, meydan olmaz (bulunmaz), meydan olur (bulunur) at olmaz (bulunmaz) ~ **heye miraz e** at murattır ~ **ji hunerê xwe dişîre** at sahibine göre eşer ~ **leyîstandin (an jî leyîstikandin)** at oynatmak (atla hüner göstermek) ~ **li ser afirê beran nayê girêdan** bir ipte iki cambaz oynamaz ~ **miraz e** at mudarttır **(ji)** ~ **peya bûn li kerê siwar bûn** attan inip eşeğe binmek ~ **pê re bezandin** at oynatmak (yarışmak) * **ez hesp pê re nabezînim** ben onunla at oynatmam ~ **pê re rewiqandin** at oynatmak (yarışmak) ~ **rewiqandin** ~ at oynatmak (bildiği ve istediği gibi davranmak) ~ **serî ji siwarê xwe stendin** gemi azıya galmak ~ **siwarê xwe nas dike** at binicisini tanır, bir işi ehli olan iyi yapar ~ **tune tu afiran çêdikî** ayıyı vurmadan postunu satmak, dereyi görmeden paçaları sıvamak ~ **tune tu radibî afiran çêdikî** (an jî ~ **tune afiran çêdike)** (ortada) fol yok yumurta yok ~ **û çeka baş ji bo roja teng pêwîst in** iyi at ve silâh dar gün dostudur ~ **zîn kirin** (hayvana) eyer vurmak ~**ek û qespek li balê yek bûn** (biri) çok cömert olmak, dünya malına tamah etmemek ~**ê baş, çeka baş, jina baş ji mirovan re divê** insana iyi at, iyi silâh ve iyi bir eş gerek ~**ê belek** alaca at ~**ê beredayî** yılkı at ~**ê berî** kır atı ~**ê beş** akıtmalı at ~**ê berzîn** binme çağına gelmiş tay ~**ê bêkêr** yaramaz at ~**ê boz** kırat ~**ê cehxwarî** arpa yemiş at gibi (yerinde duramayan kimse) ~**ê cisnan** saf kan at ~**ê çal** akıtmalı at ~**ê çeleng** çevik at ~**ê çê bi xwe pûta xwe zêde dike** yürük at yemini artırır ~**ê çê alîka xwe zêde**

**ley (I)** *m* ley (Romen para birimi)
**ley (II)** *m* yığma
**leyan (I)** *bnr* lekan
**leyan (II)** *m* istila
**leyander** *nd/rd* istilacı
**leyanderî** *m* istilacılık
**leyandin** *m* istila etme
**leyandin** *l/gh* istila etmek
**leyandok** *nd/rd* istilacı
**leyandokî** *m* istilacılık
**leydan** *m* yığma
**ley dan** *l/gh* yığmak
**leyî** *m* sel
**leyîmişt** *m* su taşkını
**leyînkar** *nd/rd* istilacı
**leyînkarî** *m* istilacılık
**leyîstander** *nd/nt* oynatımcı
**leyîstandin** *m* oynatma
**leyîstandin** *l/gh* oynatmak
**leyîstek** *m* oyuncak
**leyîstik** *m* **1.** oyun **2.** oyun (bedence ve kafaca yetenekleri geliştirmek amacıyla yapılan, çevikliğe dayanan her türlü yarışma) * **leyîstikên olîmpiyadê** olimpiyat oyunlar **3.** oyun (teniste; taraflardan birinin dört sayı kazanmasıyla elde edilen sonuç) **4.** el (iskambil oyunlarında) ~ **dan 1)** oyun vermek **2)** el vermek ~ **leyîstin** (an jî **lîstin**) oyun oynamak ~ **rast kirin** oyun kurmak ~ **qezenc kirin** oyun almak ~**a bi kaxizan** kâğıt oyunu ~**a borsayê** borsa oyunu ~**a fincanan** fincan oyunu ~**a kapan** aşık oyunu ~**a pastoral** pastoral oyun ~**a pêşîkêş** *şn* öncü oyun ~**a serîkêş** *şn* öncü oyun ~**a sîberê** *şn* gölge oyunu ~**a şûr û mertalan** kılıç kalkan oyunu ~**eke xweş lîstin** iyi oyun çıkarmak ~**a werzîşê** (an jî **sporê)** spor oyunları ~**ê meke!** oynama! (olumsuz olarak) ~**ên gundan** *şn* köy oyunları
**leyîstikander** *nd/nt* oynatımcı
**leyîstikandin** *m* oynatma
**leyîstikandin** *l/gh* **1.** oynatmak **2.** oynatmak (aklını yitirmek) * **jinika reben ji destê wî dînî aqil leyîstikand** kadıncağız o delinin elinden aklını oynatı
**leyîstikgeh** *m* oyun yeri, oyun sahası
**leyîstikîn** *m* oynanma
**leyîstikîn** *l/ngh* oynanmak
**leyîstikvan** *nd/nt* oyuncu
**leyîstikvanî** *m* oyunculuk
**leyîstin** *m* **1.** oynama (vakit geçirme, eğlenme, oyalanma gibi amaçlarla bir şeyle uğraşma) **2.** oynama (herhangi bir tutku, ilgi veya oyalanma gibi sebeple bir şeye kendini verme) **3.** oynama (bir temsilde rol alma) **4.** oynama (film gösterme) **5.** oynama (tiyatro için; sahneye koyma) **6.** oynama (eşya için; herhangi bir parçası kımıldama) **7.** oynama (sarsılma, yeri değişme) **8.** oynama (sporla ilgili çalışmalara katılma) **9.** oynama (müziğin gerektirdiği uyumlu hareketleri yapma)
**leyîstin** *l/gh* **1.** oynamak (vakit geçirme, eğlenme, oyalanma gibi amaçlarla bir şeyle uğraşmak) * **li ser çêrê zarok dileyîzin, berxik jî diçêrin** çimenler üzerinde çocuklar oynuyor, kuzular otluyor * **maç leyîst** maç oynandı **2.** oynamak (herhangi bir tutku, ilgi veya oyalanma gibi sebeple bir şeye kendini vermek) * **em topê dileyîzin tu jî têyî?** top oynuyoruz sende gelirmisin **3.** oynamak (bir temsilde rol almak) * **dê di fîlm de bileyîze** filmde oynayacak **4.** oynamak (film göstermek) * **vê heftiyê dê di sînemayê de kîjan fîlm bileyîzin?** bu hafta sinemada hangi filimler oynayacak? **5.** oynamak (tiyatro için; sahneye koymak) * **ev lîstika wan diqede naqede wê lîstika xwe ya din bileyîzin** bu oyunları biter bitmez diğer oyunlarını oynayacaklar **6.** oynamak (eşya için; herhangi bir parçası kımıldamak) * **lingên maseyê dileyîzin** masanın ayakları oynuyor **7.** oynamak (sarsılmak, yeri değişmek) * **di bivelerzê de bîna leyîst** depremde yapı oynadı **8.** oynamak (sporla ilgili çalışmalara katılmak) * **tenîs leyîstin** tenis oynamak **9.** oynamak (müziğin gerektirdiği uyumlu hareketleri yapmak) * **bi muzîkê xweş leyîst** müzik eşliğinde güzel oynadı
**leyîstok** *m* **1.** oyuncak **2.** oyun ~**a zarokan 1)** çocuk oyuncağı **2)** çocuk oyuncağı (önem verilecek değerde olmayan) **3)** çocuk oyuncağı (kolay iş)
**leyîstokfiroş** *nd/rd* oyuncakçı (satan kimse)
**leyîstokfiroşî** *m* oyuncakçılık
**leyîstoksaz** *nd/rd* oyuncakçı (yapan kimse)
**leyîstoksazî** *m* oyuncakçılık
**leyîzîn** *m* oynayış, oynama
**leyîz** *bnr* leyz
**leyîzvan** *bnr* leyzvan
**Leyl û Mecnûn** çifte kumrular
**leyl** *m* gece ~ **û Mecnûn 1)** çifte kumrular **2)** bir doğuda bir batıda iki yıldız
**leylan (I)** *m* ezgi, melodi
**leylan (II)** *m* sarap, ılgım, pusarık, yalgın
**leylandan** *m* karıkma (göz kamışma)
**leylan dan** *l/gh* karıkmak (göz için)
**leylank** *bot/m* zambak
**leylanok** *m* serap
**leylaq** *bot/m* **1.** leylak (Syringa vulgaris) **2.** leylak (bu bitkinin çiçeği)
**leyletul qedr** *nd* kadir gecesi
**leylik** *m* salıncak
**leylî** *rd* leylî, yatılı * **dibistana leylî** leylî mektep
**leyloz** *bot/m* kardelen (Galanthus nivalis)
**leymûn (I)** *bnr* limon
**leymûn (II)** *zo/m* maymun
**leyz** *m* **1.** oyun **2.** oyun (bedence ve kafaca yetenekleri geliştirmek amacıyla yapılan, çe-

vikliğe dayanan her türlü yarışma) * **leyzên olîmpiyadê** olimpiyat oyunları **3.** oyun (tiyatro veya sinemada sanatçının rolünü yorumlama biçimi) ~ **dan** oyun vermek ~ **leyîstin** (an jî **lîstin**) oyun oynamak ~ **qezenc kirin** oyun almak **~a bi kaxizan** kâğıt oyunu **~a borsayê** borsa oyunu **~a fincanan** fincan oyunu **~a kapan** aşık oyunu **~a pastoral** pastoral oyun **~a pêşîkêş** *şn* öncü oyun **~a serîkêş** *şn* öncü oyun **~a sîberê** *şn* gölge oyunu **~a şûr û mertalan** kılıç kalkan oyunu **~eke xweş lîstin** iyi oyun çıkarmak **~a werzîşê** (an jî **sporê**) spor oyunları **~ê meke!** oynama! (olumsuz olarak) **~ên gundan** *şn* köy oyunları leyza temaşeyê *şn/nd* seyirlik oyun

**leyzbaz** *nd/nt* **1.** oyuncu **2.** oyunbaz, hilekâr

**leyzbazî** *m* **1.** oyunculuk **2.** oyunbazlık, hilekârlık

**leyzgeh** *m* oyun alanı, oyun sahası

**leyznivîs** *şn nd/nt* oyun yazarı

**leyznivîsî** *şn/m* oyun yazarlığı

**leyzok** *m* oyuncak

**leyzsaz** *sp/n* oyun kurucu

**leyzsazî** *sp/m* oyun kuruculuk

**leyztop** *m* oyun topu

**leyzvan** *nd/nt* **1.** oyuncu **2.** oyuncu (sahne, sinama oyuncusu, aktör, aktris) **~ê damayê** (an jî **çeqûberkê**) dama oyuncusu **~ê dervehiya rastê** *sp* sağ açık (oyuncusu) **~ê hêla rastê yê hundir** *sp* sağ iç oyuncusu **~ê milê çepê ê duduyan** *sp* sol iç oyuncusu **~ê milê çepê** *sp* sol açık oyuncusu **~ê nîvekê** *sp* santrfor

**leyzvanî** *m* **1.** oyunculuk **2.** oyunculuk (aktörlük)

**lez** *m* **1.** acele * **leza min heye** acelem var **2.** hız, sürat **3.** şiddet * **leza bayê** rüzgârın şiddeti **4.** *h* acele **5.** *h* tez, çabuk olarak ~ **bike 1)** hızlı **2)** çabuk ol ~ **dan (tiştekî)** (bir şeye) hız vermek, hızlandırmak ~ **dan xwe** hızlanmak ~ **meke!** acele etme! ağır ol!, yavaş ol! ~ **û bez** çok acele **~a bêqam** yıldırım hızı **~a bipêşketinê** (an jî **pêketinê**) *bz* kalkınma hızı **~a goşeyî** *mat* açısal hız **~a ji nişka ve** anî hız **~a xwe zêde kirin** hızını artırmak

**leza beza** *h* çarçabuk, alelâcele, ivedilikle

**lezag** *m* sedye

**lezan** *m* **1.** hız, hızlanma **2.** *fiz/m* ivme

**lezandin** *m* **1.** hızlandırma **2.** aceleleştirme, acele ettirme **3.** çabuklaştırma, tezleme, ivdirme **4.** süratlendirme

**lezandin** *l/gh* **1.** hızlandırmak **2.** aceleleştirmek, acele ettirmek **3.** çabuklaştırmak, tezlemek, ivdirmek **4.** süratlendirmek

**lezannivîs** *m* ivmeyazar

**lezanpîv** *m* ivmeölçer

**lezatî** *m* **1.** hızlılık **2.** çabukluk **2.** *fiz* hız, sürat

**lezayî** *m* **1.** hızlılık, sürat **2.** çabukluk **3.** hız, sürat

**lezbiyen** *m* lezbiyen, sevici

**lezbiyenî** *m* lezbiyenlik, sevicilik

**lezbot** *m* sürat botu

**lezbûn** *m* ivedileşme

**lez bûn** *l/ngh* ivedileşmek

**lezdan** *m* **1.** hızlandırma, hız verme, ivme kazandırma **2.** süratlendirme **~a dilî** kalp çarpıntısı (hızlı bir şekilde atması) **~a goşeyî** *mat* açısal ivme

**lez dan** *l/gh* **1.** hızlandırmak, hız vermek, ivme kazandırmak **2.** süratlendirmek

**lezdar** *rd* **1.** hızlı **2.** süratlı **3.** şiddetli

**lezdayîn** *m* **1.** hızlandırış, hız veriş, ivme kazandırış **2.** süratlendiriş

**lezelez** *h* çarçabuk, alelâcele, ivedilikle

**lezelezkirin** *m* acele etme

**lezelez kirin** *l/gh* acele etmek

**lezelezkirî** *rd* acele edilmiş, acele olarak yapılmış

**lezet** *m* **1.** lezzet, tat (hoşa giden durum) * **min lezetek ji vê pirtûkê negirt** bu kitapta tat bulamadım **2.** kuru (heyacanı, tadı olmayan, tek düze) * **jiyaneke bêtehm û lezet** kuru, zevksiz bir hayat **~a xweş** hoş lezzet, güzel tat

**Lezgî** *nd/rd* Lezgi

**lezgîn** *rd* **1.** hızlı **2.** aceleci, evecen, ivecen, ivegen **3.** süratlı, tez (çabuk olan) **4.** hızlı, şiddetli, yollu (taşıtlar için) * **keştiya lezgîn** yollu gemi **5.** içi tez

**lezgînayî** *m* **1.** hızlılık **2.** acelecilik, ivedilik **3.** süratlılık

**lezgînbûn** *m* ivedilenme

**lezgîn bûn** *l/ngh* ivedilenmek

**lezgînî** *m* **1.** hızlılık **2.** acelecilik, ivecenlik, ivedilik, evecenlik **3.** çabukluk **4.** sürat

**lezîn** *m* **1.** hızlanma, hızlanış **2.** kıvrama (hızlı yürüme) **3.** acele etme, ivme **4.** çabuklaşma **5.** süratlenme **6.** *fiz* ivme

**lezîn** *l/ngh* **1.** hızlanmak **2.** kıvramak (hızlı yürümek) **3.** acele etmek, ivmek **4.** çabuklaşmak **5.** süratlenmek

**lezîtî** *m* **1.** hızlılık **2.** çabukluk, tezlik **3.** acelelik, ivedilik, acil

**lezkar** *m* düzengeç, regulator

**lezker** *rd* **1.** hızlandırıcı **2.** aceleci, acul, ivecen, iveğen

**lezkerî** *m* **1.** hızlandırıcılık **2.** acelecilik, aculluk, ivecenlik, iveğenlik

**lezkirin** *m* **1.** hızlanma **2.** acele etme, ivedileştirme, ivme

**lez kirin** *l/gh* **1.** hızlanmak **2.** acele etmek, ivedileştirmek, ivmek

**lezkî** *h* **1.** hızlı, hızlı olarak **2.** acele olarak

**lezlezandin** *m* **1.** hızlandırma **2.** acele etme

**lezlezandin** *l/gh* **1.** hızlandırmak **2.** acele etmek

**lezlezî** *h* **1.** hızlı olarak **2.** çarçabuk, alelâcele, ivedilikle

**lezlezîn** *m* **1.** hızlanış, hızlanma **2.** acele edilmek

**lezlezîn** *l/ngh* 1. hızlanmak 2. acele edilmek
**lezlezok** *rd* aceleci
**leznuma** *m* hız belirtici, metronom
**lezo bezo** *h* çarçabuk, alelâcele, ivedilikle
**lezok** *rd* 1. hızlı 2. aceleci
**lezoke** *rd* 1. hızlı, hızlıca 2. aceleci, acelecice
**lezpîv** *tek/m* hızölçer, ivmeölçer
**lezxwar** *rd* çabuk yiyen
**lezyon** *bj/m* lezyon, doku bozukluğu
**lê (I)** *g* 1. ama, fakat, lâkin (çelişkili ve tutarsız iki cümleyi birbirine bağlar) * xwarin hindik e, lê bitehm e yemek az, ama lezetli 2. ama (uyarma veya şartlı bir ifade niteliğinde olan bir cümleyi, başka bir cümleye bağlamaya yarar) * **hûn dibêjin ku ez dê sibehê werim, lê ez dê ne li malê bim** yarın geleceğim diyorsunuz, ama ben evde bulunmayacağım 3. ama (beklenmeyen sonucu anlatan iki cümleyi onun sebebi durumunda olan cümleye bağlar) * **ez têkilî vî karî bûm, lê poşman im** ben bu işe karıştım, ama pişmanım 4. ama (bir yargıyı, bir buyruğu pekiştirmek için de kullanılır) * **xweş, lê gotineke xweş got** güzel, ama güzel bir söz söyledi 5. ama (bazen dikkatı çekmek için cümlenin sonuna getirilir) * **ev gotin nayê gotin lê!** bu söz söylenmez ama! 6. ama, amma (şaşma veya hayranlık katar) * **lê tiştekî xweş e ha!** ama güzel şey 7. oysa 8. fakat, yalnız 9. *h* yalnızca * **ez dê biçim, lê ez hevalên xwe dixwazim** giderim yalnız arkadaşlarımı isterim 10. öyleyse * **lê wê kengê bê?** öyleyse ne zaman gelir? ~ **belê** ama, fakat, lakin
**lê (II)** *rd* geçerli (çocuk oyunları gibi oyunlarda)
**lê (III)** *rd* 1. bire bir (istenildiği gibi, uygun) 2. kip, tıpa tıp
**lê (IV)** *b* kadınlara teklifsiz konuşmalarda, seslenmede ~ ~ **kirin lo lo hatin** ne umdu ne buldu ~ ~ **kirin lo lo jê re hatin** rüzgâr ekip fırtına biçmek ~ ~ **ye lo lo li paş e** daha bu ne ki
**lê (V)** *b* 1. ya (onaylama, tastikleme, evet anlamında) * **lê wisan e lê** ya, öyle ya 2. ya (bilinen, görülen, hatırlanıp anlatılan bir olay sebebiyle de sorulan başka bir konu için kullanılır) * **we zikê xwe têr kir, ya ez çi bikim?** siz karnınızı doyurdunuz, ya ben ne yapayım? 3. ya (ayrı cins öğelerden biri ötekilerden üstün görüldüğünde kullanılır) * **firtûne lê xist şikand, hilweşand, lê ew ziyana ku da daran?** fırtına kırdı, döktü, yıktı, ya o ağaçlara verdiği zarar? 4. ya (cevap niteliğinde olan cümlenin sonuna getirildiğinde asıl yargının arkadan gelen cümle ile anlatılacağını belirtir)* **ne kurikekî xerab e, ne xerab e lê hinek serxweşiya wî heye** fena oğlan değildir, değildir ya, yalnız biraz sarhoşluğu var ~ **ku** ya (bir düşüncenin karşıtı düşünülürken kullanılır) * **tu dibêjî ez dê bigihimê, lê ku tu negihiyê?** yetişirim diyorsun, ya yetişemezsen?
**lê (VI)** *c* 1. onda * **diravê min lê ma** param onda kaldı 2. şuna * **tu lê** şuna bak ~ **baleçep bûn** ham hum şaralop ~ **bibe jehr û ziqûm** (yediği) zehir zıkkım olsun ~ **bixin bi tîran, aş bikin bi kîran** argo karnından sıpayı sırtında sopayı eksik etmeyeceksin ~ **bûn (...)** kesilmek (kendini bir şey gibi göstermek) * **li me bûbû qehreman** bize kahraman kesilmişti ~ **bûn pêsîrtengî** dara düşmek (zor durumda kalmak) ~ **bûn saw û sepet** eşekten düşmüş karpuza dönmek (çok şaşırmak, donup kalmak) ~ **bûn (tiştekî) xerab** hâlini almak * **nexweşîn lê bû psîkozeke xeternak** hastalık tehlikeli bir psikoz hâlini aldı ~ **bûye wekî def** (an jî **zirne**) davul gibi (şiş) **(yek)** ~ **çi dike?** (herhangi bir yerde) ne arıyor? * **tu li vir çi dikî zû here malê** sen burda ne arıyorsun, çabuk eve git ~ **dek û dolap çêkirin** (birinin) başına çorap örmek ~ **dek û dolab gerandin** (birine) düzen kurmak ~ **ecele kirin** sıkıştırmak, dara getirmek ~ **fend û fût çêkirin** (birinin) başına çorap örmek ~ **hatin zêdekirin** eklenmek, ziyadeler yapılmak **(tiştek)** ~ **kirin bela** (bir şey birinin) başına sarmak ~ **kirin helalî heram 1)** (bir şeyi birine) haram etmek **2)** davul parası etmek ~ **kirin hiryohiryo** yuha çekmek (veya yuhaya tutmak) ~ **kirin xewna qazî** *mec* hayal gördürmek, birini deliye döndürmek ~ ~ **kirin, lolo hatin** boş atıp dolu tutmak (vurmak) ~ ~ **kirin lolo jê re hatin** bir taşla iki kuş vurmak ~ ~ **ye lo lo li paş e** daha bu ne ki! ~ **nebûn xwedî** (an jî **xweyî**) **1)** sahiplenmemek, sahip çıkmamak **2)** oralı olmamak ~ **nehatin rehmê** (birinin) gözünün yaşına bakmamak ~ **piştvanekê (yekî) hebûn** (birinin) mahkemede dayısı olmak ~ **pîroz (û bimbarek) be** (birine bir şey) hayırlı olsun ~ **qar hatin** (bir şey birinin) gücüne gitmek ~ **silav hatin dayîn** selâmlanmak ~ **tehdeyî kirin** (birine) zülmetmek **(tiştek)** ~ **xurîn** rahat kıçına batmak, rahat batmak
**lêaliqîn** *m* (bir şeye) takılma, takılıp kalma
**lê aliqîn** *l/ngh* (bir şeye) takılmak, takılıp kalmak
**lêamadebûn** *m* (bir yerde) hazır bulunma (veya olma)
**lê amade bûn** *l/bw* (bir yerde) hazır bulunmak (veya olmak)
**lêanî** *rd* 1. uydurma 2. uyarlama, uyarlanmış, adapte
**lêanîn** *m* 1. uydurma 2. yakıştırma, yaraştırma 3. uyarlama, adapte etme 4. denk getirme 5. alıştırma (uyar hale getirme) 6. *wj* uyarlama, adaptasyon,

**lê anîn** *l/gh* **1.** uydurmak **2.** yakıştırmak, yaraştırmak **3.** uyarlamak, adapte etmek **4.** denk getirmek **5.** alıştırmak (uyar hale getirmek) * **kilît li qefleyê anî** anahtarı kilide alıştırdı
**lêarandin** *m* kışkırtma, ateşlendirme
**lê arandin** *l/gh* kışkırtmak, ateşlendirmek
**lêarastebûn** *m*-e yönelme
**lê araste bûn** *l/bw* -e yönelmek
**lêarastebûyî** *rd* yönelmiş
**lêarastebûyîn** *m* yönelme
**lêartilîn** *m* (bir şeye) takılma, takılıp kalma
**lê artilîn** *l/ngh* (bir şeye) takılmak, takılıp kalmak
**lêasêbûn** *m* **1.** kendine mal etme, ahzükabz, boynuna geçirme (zimmetine geçirme) **2.** üstüne oturma (veya yatma), üzerine oturma (veya yatma), üstüne konma **3.** zorla alı koyma
**lê asê bûn** *l/bw* **1.** kendine mal etmek, boynuna geçirmek (zimmetine geçirmek) **2.** üstüne oturmak (veya yatmak), üzerine oturmak (veya yatmak), üstüne konmak **3.** zorla alı koymak
**lêavêtin** *m* fışkırma (bitkiler için; toplu halde, gür olarak yetişme)
**lê avêtin** *l/gh* fışkırmak (bitkiler için; toplu halde, gür olarak yetişmek) * **di vê erda ziwa de giya çawan lê avêtine** bu kuru toprakta nasılda otlar fışkırmış
**lêb** *m* oyun, desise, hile
**lêbadan** *m* (birini) tokatlama, kazıklama
**lê ba dan** *l/bw* (birini) tokatlamak, kazıklamak
**lê balete bûn** *l/bw* -e girişmek, yönelmek
**lêbalimçebûn** *m* (birine) ayan beyan görünme
**lê balimçe bûn** *l/bw* (birine)ayan beyan görünmek
**lêban** *rd* kandırıcı
**lêbanandin** *m* (birine veya bir şeye) alıştırmak
**lê banandin** *l/gh* (birine veya bir şeye) alıştırmak
**lêbandorkirin** *m* etkileme, etkide bulunma, etki yapma, hükmetme, etkili olma, kâr etmek
**lê bandor kirin** *l/bw* etkilemek, etkide bulunmak, etki yapmak, hükmetmek, etkili olmak, kâr etmek * **lêdan lê bandor nake** dayak kâr etmiyor
**lêbane** *bnr* banek
**lêbanî** *bnr* banek
**lêbanîn** *m* **1.** (birine veya bir şeye) alışma **2.** alışma (uyar duruma gelme, intibak etme)
**lê banîn** *l/ngh* **1.** (birine veya bir şeye) alışmak **2.** alışmak (uyar duruma gelmek, intibak etmek)
**lêbar** *rd* **1.** bahane üstünde olma **2.** uygun, müsait
**lê barandin** *m* **1.** -e yağdırma **2.** *mec* yağdırma
**lê barandin** *l/gh* **1.** -e yağdırmak **2.** *mec* yağdırmak * **name lê barandin** ona mektuplar yağdırdılar
**lêbarbûn** *m* **1.** yüklenme **2.** bahane üstünde olma (bir şeye karşı dolu olma)
**lê bar bûn** *l/bw* **1.** yüklenmek **2.** bahane üstünde olmak (bir şeye karşı dolu olmak)
**lêbarker** *nd/nt* **1.** yükleyici **2.** isnat edici, isnat eden
**lêbarkerî** *m* **1.** yükleyicilik **2.** isnat edicilik
**lêbarkirin** *m* **1.** (birine veya bir şeye) yüklme **2.** anlam yükleme **3.** yükleme (yükümlülük altına sokma) **4.** yük vurma (hayvana yük yükleme) **5.** yükleme, şarj etme **6.** yükleme, atfetme, isnat, isnat etme.
**lê bar kirin** *l/bw* **1.** (birine veya bir şeye) yüklmek **2.** anlam yüklemek **3.** yüklemek (yükümlülük altına sokmak) **4.** yük vurmak (hayvana yük yüklemek) **5.** yüklemek, şarj etmek **6.** yüklemek, atfetmek, isnat etmek
**lê behitî** *rd* şaşılası
**lêbek** *rd* kandırıcı
**lêbelabûn** *m* **1.** yayılma, genişleme (çevreye yayılma) **2.** yayılma (genelleşme) **3.** yayılma, kaplama, bürüme **4.** (hastalık) yayılma, pek çok kimseye geçme **5.** kaplama, sarma **6.** yayılma, sıçrama (bir yerden başka bir yere geçme) **7.** çavma, saçma (ışık, koku, sıcak dağılıp yayılma) **8.** dökülme (kır, sokak gibi yerlerde insanlar çokça birikme) **9.** yayılma, alıp yürüme, uzanma, bir alana yayılma **10.** dağılma
**lê belav bûn** *l/bw* **1.** yayılmak, genişlemek (çevreye yayılmak) **2.** yayılmak (genelleşmek) **3.** yayılmak, kaplamak, bürümek * **giya li bexçe bela bûye** ot bahçeyi istila etmiş **4.** (hastalık) yayılmak, pek çok kimseye geçmek **5.** kaplamak, sarmak * **roniya ampûlê li odeyê belav bûbû** ampulün ışığı odayı tamamen sarmıştı **6.** yayılmak, sıçramak (bir yerden başka bir yere geçmek) * **agir li taxê belav bû** ateş mahalleye sıçradı **7.** çavmak, saçmak (ışık, koku, sıcak dağılıp yayılmak) **8.** dökülmek (kır, sokak gibi yerlerde insanlar çokça birikmek) * **roja bûyerê her kes li kuçeyê bela bû** olay günü herkes sokağa döküldü **9.** yayılmak, alıp yürümek, uzanmak, bir alana yayılmak **10.** dağılmak
**lêbelavî** *ab/m* **1.** dağılım (ulusal gelirin toplumun bireyleri veya kesimleri arasındaki dağılışı) * **lêbelaviya dahatê** gelir dağılımı **2.** dağılım (mal üretiminde katkıda bulunanlara üretilen malların herhangi bir ölçüde verilmesi)
**lêbelavkirin** *m* **1.** yayma **2.** yayma, duyurma **3.** dağıtım, dağıtma **4.** sıçratma **5.** kaplatma
**lê belav kirin** *l/bw* **1.** yaymak **2.** yaymak, duyurmak * **navê çeteyê li her aliyî belav kir** çetenin ismini her tarafa yaydı **3.** dağıtmak

4. sıçratmak 5. kaplatmak
**lê belê** *g* 1. ama, fakat, lakin (çelişkili ve tutarsız iki cümleyi birbirine bağlar) * xwarin hindik e, lê belê bitehm e yemek az, ama lezetli 2. ama (uyarma veya şartlı bir ifade niteliğinde olan bir cümleyi, başka bir cümleye bağlamaya yarar) * **hûn dibêjin ku ez dê sibehê werim, lê belê ez dê ne li malê bim** yarın geleceğim diyorsunuz, ama ben evde bulunmayacağım 3. ama (beklenmeyen sonucu anlatan iki cümleyi onun sebebi durumunda olan cümleye bağlar) * **ez têkilî vî karî bûm, lê belê poşman im** ben bu işe karıştım, ama pişmanım 4. ama (bir yargıyı, bir buyruğu pekiştirmek için de kullanılır * **xweş, lê belê gotineke xweş got** güzel, ama güzel bir söz söyledi 5. *g* gel gelelim * **lê belê em bên ser vê meseleyê wê çawa be gelo?** gel gelelim meseleye, ne olacak şimdi? 6. *g/h* ancak (lâkin, ama, yalnız) * **ez dest bi vî karî dikim, lê belê nikarim biqedînim** bu işe başlıyorum, ancak bitiremem 7. ne var (ne var ki) * **lê belê ez nikarim van gotinê te qebûl bikim** ne varki senin bu dediklerini kabul etmem imkansız 8. yeter ki
**lêbeyanbûn** *m* 1. (birine) beyan olma 2. içine doğma
**lê beyan bûn** *l/bw* 1. (birine) beyan olmak 2. içine doğmak
**lêbicih bûn** *m* 1. yerleşme 2. yerleşme, mesken tutma, ikamet etme 3. konumlanma 4. ispat olma (birinin yaptığı veya işlediği suçu ispat etme)
**lê bi cih bûn** *l/bw* 1. yerleşmek 2. yerleşmek, mesken tutmak, ikamet etmek 3. konumlanmak 4. ispat olmak (birinin yaptığı veya işlediği suçu ispat etmek)
**lêbicihkirin** *m* 1. yerleştirme 2. yerleştirme, iskan etme 3. ispatlama 4. itiraf ettirme, bülbül gibi konuşturma (veya söyletme)
**lê bi cih kirin** *l/bw* 1. yerleştirmek 2. yerleştirmek, iskan etmek 3. ispatlamak 4. itiraf ettirmek, bülbül gibi konuşturmak (veya söyletmek)
**lêbidîqatbûn** *m* (birine veya bir şeye) dikkatlı olma, mukayat olma
**lê bi dîqat bûn** *l/bw* (birine veya bir şeye) dikkatlı olmak, mukayat olmak
**lêbigefbûn** *m* (birine) yeminli olma, kinli olma
**lê bi gef bûn** *l/bw* (birine) yeminli olmak, kinli olmak
**lêbigirbûn** *m* (birine) kin bağlama
**lê bi gir bûn** *l/bw* (birine) kin bağlamak
**lêbihêrsbûn** *m* (birine) kızgın olma
**lê bi hêrs bûn** *l/bw* (birine) kızgın olmak
**lêbihur** *rd/hd* af edici
**lêbihurî** *m* af edicilik
**lêbihurîn** *m* 1. affetme, bağışlama 2. kaçırma (bir işi belirlenen zamanda yapmama)
**lê bihurîn** *l/gh* 1. affetmek, bağışlamak 2. kaçırmak (bir işi belirlenen zamanda yapmama)
**lêbikeysbûn** *m* 1. uyma, uygun olma 2. alışmak, uyar duruma gelme, intibak etme
**lê bi keys bûn** *l/bw* 1. uymak, uygun olmak 2. alışmak, uyar duruma gelmek, intibak etmek
**lêbikeyskirin** *m* 1. uydurmak, uygun duruma getirme 2. alıştırmak, uyar hale getirme
**lê bi keys kirin** *l/bw* 1. uydurmak, uygun duruma getirmek 2. alıştırmak, uyar hale getirmek * **kilît li qefleyê bi keys kir** anahtarı kilide alıştırdı
**lêbikirbûn** *m* (birini) kafaya takma, (birine) kafayı takmış olma
**lê bi kir bûn** *l/bw* (birini) kafaya takmak, (birine) kafayı takmış olmak
**lêbikînbûn** *m* (birine) kin bağlama, (birine) kin gütme, (birine) kin gütmüş olma
**lê bi kîn bûn** *l/bw* (birine) kin bağlamak, (birine) kin gütmek, (birine) kin gütmüş olmak
**lêbinazbûn** *m* (birine) nazlanma, (birine) naz yapma
**lê bi naz bûn** *l/bw* (birine) nazlanmak, (birine) naz yapmak
**lêbirikbûn** *m* (birine) kin bağlama, (birine) kin gütme, (birine) kin gütmüş olma
**lê bi rik bûn** *l/bw* (birine) kin bağlamak, (birine) kin gütmek, (birine) kin gütmüş olmak
**lê birin û anîn** *l/bw* gezdirmek (sürterek, değdirerek hareket ettirmek) * **ûtî li ser qumaş bir û anî** ütüyü kumaşın üstünde gezdirdi
**lêbirîn** *m* kestirme, tahmin etme
**lê birîn** *l/gh* kestirmek, tahmin etmek * **min sê olçek lê birî** ben üç ölçek kestirdim
**lêbok** *nd/nt* 1. yaltak, yaltakçı 2. dalkavuk, şaklaban 3. hilebaz, hilekâr 4. maskara, soytarı
**lêbokî** *nd/nt* 1. yaltaklık, yaltakçılık 2. dalkavukluk, şaklabanlık 3. hilebazlık, hilekârlık 4. maskaralık, soytarılık 5. *rd* yaltakça 6. dalkavukça, şaklabanca ~ **kirin** 1) yaltakçılık etmek, yaltaklık etmek 2) dalkavukluk etmek
**lêbokîbûn** *m* 1. yaltaklaşma 2. dalkavuklaşma 3. hilekârlaşma 4. soytarılaşma
**lêbokî bûn** *l/gh* 1. dalkavuklaşmak 2. dalkavuklaşmak 3. hilekârlaşmak 4. soytarılaşmak
**lêbokîkirin** *m* yaltaklanma
**lêbokî kirin** *l/gh* yaltaklanmak
**lêbor** *nd/nt* bağışlayıcı
**lêborandin** *m* 1. (birini) aşma, geçme 2. mazur görme
**lê borandin** *l/gh* 1. (birini) aşmak, geçmek 2. mazur görmek
**lêborî** *rd* muaf, bağışlanmış, affedilmiş olan
**lêborîn** *m* 1. (birini) aşma, geçme 2. affetme,

affeyleme, bağışlama, af (mazur görme veya görülme) **3.** özür, özür dileme **~a xwe xwestin 1)** af dilemek, afını dilemek (veya istemek) * **li min negirin ez dê nikaribim vî karî bikim** afımı istiyorum bu işi yapamayacağım **2)** özür dilemek (yaptığı bir yanlışlıktan dolayı bağışlanmasını istemek)

**lê borîn** *l/gh* **1.** (birini) aşmak, geçmek **2.** affetmek, affeylemek, bağışlamak, hoşgörü ile karşılamak, mazur görmek **3.** özür dileme * **li min bibore** özür diliyorum

**lêborîner** *rd/nd* af edici

**lêborînerî** *m* af edicilik

**lêborînker** *bnr* lêborîner

**lêborînxwaz** *nd/nt* af dileyen, bağışlanmak isteyen

**lêborînxwaz** *nd/nt* affını dileme, bağışlanmasını isteme

**lêborîtî** *m* affetme, bağışlama, bağışlayıcılık, mazur görülme

**lêbûk** *bnr* lêbok

**lêbûn (I)** *m* **1.** inşa olma, kurulma (yapılma) **2.** örülme (duvar için)

**lêbûn (II)** *m* **1.** uyma, uygun gelme **2.** uyma, gelme, denk gelme (ölçüleri birbirini tutma) **3.** bulunma, olma (bir yerde olma veya bulunma) **4.** gelip geçme (bir süre bir yerde, bir makamda bulunma) **5.** üstünde olma, giyinik olma (elbise için) **6.** uçma (belirme) **7.** borçlu olma, borcu bulunma **8.** yatma (boş yere bekleme) **9.** -de bulunma (olma, yaşama) **10.** sahip olma, var olma (herhangi bir niteliğe sahip bulunma) **11.** boynuna alma **12.** -e dönük olma **13.** görme, gözü olma (çok değer verme) **14.** taşıma, giyme **15.** başa gelme, olma, oluşma

**lêbûn (III)** *m* **1.** geçerli olma, sayma (geçer tutma) **2.** uygun olma

**lê bûn (I)** *l/ngh* **1.** inşa olmak, kurulmak (yapılmak) * **xanî lê bû** ev inşa oldu **2.** örülmek * **dîwar lê nebûye** duvar örülmemiş

**lê bûn (II)** *l/ngh* **1.** uymak, uygun gelmek* **ev cil tam lê bû** bu elbise ona tam uydu **2.** uymak, gelmek, denk gelmek (ölçüleri birbirini tutmak) * **pêlav li piyê wê bû** ayakkabı ayağına uydu * **sol li piyê wê bû lê nebû?** ayakkabı ayağına iyi geldi gelmedi mi? **3.** bulunmak, olmak (bir yerde olmak veya bulunmak) * **baş bû ku hûn li vir nebûn** iyi ki orada bulunmadınız * **lazim e ku ez piştî nîvro li wirê bim** öğleden sonra orda olmalıyım **4.** gelip geçmek (bir süre bir yerde, bir makamda bulunmak) **5.** üstünde olmak, giyinik olmak (elbise için) * **saqoyekî reş lê bû** siyah bir ceket üstünde vardı **6.** uçmak (belirmek) * **îfadeyên zarokî li rûyê wî bûn** yüzünde çocuksu ifadeler uçuyordu **7.** borçlu olmak, borcu bulunmak * **dinyayek deyn lê bû** bir sürü borcu bulunuyor * **pereyê min lê** ye o bana para borçludur **8.** yatmak (boş yere beklemek) * **mal li depoyê ne** mallar depoda yatıyorlar **9.** -de bulunmak (olmak, yaşamak) * **Ew hê jî li Farqînê ye** o hâlâ Silvanda **10.** sahip olmak, var olmak (herhangi bir niteliğe sahip bulunmak) * **pozekî mezin lê bû** iri bir burnu vardı * **bejn û baleke xweş lê bû** güzel bir boy posa sahipti **11.** boynuna almak * **ev deynli min e** bu borcu ben boynuma alıyorum **12.** -e dönük olmak * **pişta wî li min bû** sırtı bana dönüktü **13.** görmek, , gözü olmk (çok değer vermek) * **hema çavên wî li pereyan e** gözü paradan başka bir şey görmüyor **14.** taşımak, giymek * **unîformaya dewletê lê bû** devlet uniforsmasını taşıyordu **15.** başa gelmek, olmak, oluşmak

**lê bûn (III)** *l/ngh* **1.** geçerli olmak, saymak (geçer tutmak) * **ev hatina we nelê ye** bu seferki gelişinizi saymıyorum (veya geçersiz) **2.** uygun olmak

**lê bûn ar û dan** *l/bw* geçimsizleşmek, huysuzlaşmak

**lêbûnbar** *m* **1.** (birine) yük olma **2.** (birine) ağırlık olma

**lê bûn bar** *l/bw* **1.** (birine) yük olmak **2.** (birine) ağırlık olmak * **li kesî nabe bar** kimseye ağırlık olmaz

**lê bûn bela** *l/bw* **1.** (birinin) başına belâ olmak **2.** *mec* ilet olmak, kangren olmak (hastalık için)

**lê bûn eks** *l/bw* (birine) inat olmak

**lê bûn êvar** *l/bw* (birine) akşam olmak

**lê bûn guhdar** *l/bw* (birine) kulak misafiri olmak

**lê bûn heyret** *l/bw* hayretler içinde kalmak, bakakalmak

**lê bûn jehr** *l/bw* (birine) zehir zıkkım olmak

**lê bûn mal** *l/bw* (birine) mal olmak, mal etmek (bir değer karşılığında sahip olmak) * **erse li ser min bi pênc milyarî bû mal** arsayı beş milyara mal ettim

**lê bûn mêvan** *l/bw* (birine veya bir yere) konuk olmak, misafir olmak

**lê bûn mîna peraniyan** *l/bw* canavarlaşmak

**lê bûn pêsîrtengî** *l/bw* dara düşmek, başı sıkışmak, başına bir hal gelmek (kötü bir duruma uğramak)

**lê bûn ronî** *l/bw* aydınlanmak, aydınlığa çıkmak, üzerine ışık doğmak

**lê bûn saw** *l/bw* yanılsamak

**lê bûn sibeh** *l/bw* sabahı bulmak, sabahı etmek (sabaha kadar uyumamak) * **ez xewherimî bûm, bi zor li min bû sibeh** hiç uyumadım, sabahı zor ettim

**lêbûnxwedî** *m* **1.** sahiplenme, sahip olma **2.** sahip çıkma, ilgilenme (ilgilenip gözetme) **3.** sahiplenme, kayırma **4.** (birine) kanat açma **5.** (birini) arayıp sorma

**lê bûn xwedî** *l/bw* **1.** sahiplenmek, sahip ol-

mak **2.** sahip çıkmak, ilgilenmek (ilgilenip gözetmek) **3.** sahiplenmek, kayırmak **4.** (birine) kanat açmak **5:** (birini) arayıp sormak
**lê bûn xweyî** *bnr* lê bûn xwedî
**lê bûn yek** *l/bw* (birine karşı) birlik olmak, bir olmak * **bav û kur li min bûn yek û li min dan** baba oğul bir olup beni döğdüler
**lê bûn zende** *l/bw* (bir yere) takılıp kalmak
**lê bûn ziqûm** *l/bw* zehrolmak, zehir zikkım olmak
**lê bûrîn** *bnr* lê borîn
**lêbûyî** *rd* **1.** inşa halde **2.** örülü (duvar)
**lêbûyîn (I)** *m* **1.** inşa oluş, kuruluş (yapılış) **2.** örülülüş (duvar için)
**lêbûyîn (II)** *m* **1.** uyuş, uygun geliş **2.** uyuş, geluş, denk geliş (ölçüleri birbirini tutma) **3.** bulunuş, oluş (bir yerde olma veya bulunma) **4.** gelip geçiş (bir süre bir yerde, bir makamda bulunma) **5.** üstünde oluş, giyinik oluş (elbise için) **6.** uçuş (belirme) **7.** borçlu oluş, borcu bulunuş **8.** yatış (boş yere bekleme) **9.** -de bulunuş (olma, yaşama) **10.** sahip oluş, var oluşa (herhangi bir nitaliğe sahip bulunma) **11.** boynuna alış **12.** -e dönük oluş **13.** görme, gözü olma (çok değer verme) **14.** taşıma, giyme **15.** başa geliş, oluş, oluşma
**lêbûyîn (III)** *m* geçerli oluş, sayış (geçer tutma)
**lêcedandin** *m* **1.** didinme, uğraşma, baş koşma (bir işi başarmak için çalışma) **2.** güdümleme
**lê cedandin** *l/gh* **1.** didinmek, uğraşmak, baş koşmak (bir işi başarmak için çalışmak) **2.** güdümlemek
**lêcivandin** *m* **1.** (bir yerde) toplatma **2.** *fiz* odaklaştırma
**lê civandin** *l/gh* **1.** (bir yerde) toplatmak **2.** *mec* odaklaştırmak
**lêcivîn** *m* **1.** (bir yerde) toplanma **2.** derişme, temerküz etme **3.** üşüşme **4.** yığılma, birikme, yuvalanma **4.** toplanma, odaklanma
**lê civîn** *l/gh* **1.** (bir yerde) toplanmak **2.** derişmek, temerküz etmek **3.** üşüşmek **4.** yığılmak, birikmek, yuvalanmak **4.** toplanmak, odaklanmak * **her tiş li ser vê nuqteyê civiyaye** herşey bu noktaya odaklanmış
**lê cor kirin** *l/bw* hastalık ilerlemek, etkili olmaya başlamak
**lê col bûn** *l/bw* **1.** toplaşmak **2.** üşüşmek * **se lê col bûn** köpekler başına üşüştü
**lê çawa** *h* elbet, elbette, tabi
**lêç (I)** *bnr* lîç
**lêç (II)** *m* sapma (doğru yoldan sapma)
**lêçek** *m* leçek (baş örtüsü) ~**a dorbimorî** etrafı boncuklu kadın baş örtüsü
**lêçerxbûn** *m* dönme (-den sapma)
**lê çerx bûn** *l/bw* dönmek (-den sapmak) * **gava ku tu li goşe çerx bûyî rast here mala pêşîn a ku derkeve ser riya te** köşeyi dönünce karşına çıkacak eve git
**lêçetînhatin** *m* (birine) güç gelme, zor gelme
**lê çetîn hatin** *l/bw* (birine) güç gelmek, zor gelmek
**lêçêbûn** *m* **1.** ortaya çıkma, arız olma **2.** başına gelme, yaşanma
**lê çêbûn** *l/ngh* **1.** ortaya çıkmak, arız olmak * **ev dert paşê lê çêbûn** bu dertler ondan arız oldu **2.** başına gelmek, yaşanmak * **ev tiştê ku li min çêbû** bu başıma gelen şey
**lêçêkirin** *m* hazırlama, kurma (önceden hazırlama, gizlice hazırlama, tasarlama)
**lê çêkirin** *l/gh* hazırlamak, kurmak (önceden hazırlamak, gizlice hazırlamak, tasarlamak) * **komplo lê çêkirin** komplo hazırlamak * **dek lê çêkirin** düzen kurmak
**lêçêr** *rd* evegen, iveğen, hâd, akut (çabuk ilerleyen hastalık için) * **nexweşîneke lêçêr** evegen bir hastalık
**lêçêrandin** *m* **1.** (bir yerde) yayma, otlatma **2.** yayma (sınırı genişletme)
**lê çêrandin** *l/gh* **1.** (bir yerde) yaymak, otlatmak **2.** yaymak (sınırı genişletmek) * **leke lê çêrandin** lekeyi yaymak
**lêçêrîn** *m* **1.** (bir yerde) yayılma, otlanma **2.** yayılma (genişleme, büyüme, meydan alma, gelişme (hastalık vb. için) **3.** *argo* otlanma
**lê çêrîn** *l/ngh* **1.** (bir yerde) yayılmak, otlanmak **2.** yayılmak (genişlemek, büyümek, meydan almak, gelişmek (hastalık vb. için) * **lekeya rûn zû lê diçêre** yağ lekesi çabuk yayılır **3.** *argo* otlanmak
**lêçûn** *m* **1.** ilerleme (bulunduğu yerden daha ileriye gitme, yol alma) **2.** benzeme **3.** benzeme, çekme (birinin ailesinde birine herhangi bir bakımdan benzeme) **4.** pavkırma (alev alev yanma, alev bir yere doğru yönelme) **5.** tutuşma, ateş alma **6.** kaçırma (zamanında yapamama) **7.** muhtaç olma (dini olarak zekat, sadaka vb.yi alabilir durumda olma) **8.** masraf, harcama, gider (harcanan para) **9.** *bz* gider, masraf (gelecekte gelecek değerler karşılığı yapılan harcama) * **dahat û lêçûnan rûberî hev bike** gelir ile giderleri karşılaştır ~ **û jêhatin** *bz* girdi çıktı, girdisi çıktısı (bir şeyin gelir ve gideri) ~**a giştî** (an jî **tevayî**) genel gider
**lê çûn** *l/ngh* **1.** ilerlemek (bulunduğu yerden daha ileriye gitmek, yol almak) **2.** benzemek * **cil û bergên wî li yên mîran diçin** giysileri beylerinkine benziyor **3.** benzemek, çekmek (birinin ailesinde birine herhangi bir bakımdan benzemek) * **lawik li bavê xwe çûyê** çocuk babasına benziyor * **keç li metan kur li xalan diçin** kızlar halaya, erkekler dayıya çek **4.** pavkırmak (alev alev yanmak, alev bir yere doğru yönelmek) **5.** tutuşmak, ateş almak * **agir xweş lê diçe** iyi ateş alıyor **6.** kaçırmak (zamanında yapamamak * **nimêj li min çû** namazı kaçırdım **7.** muh-

taç olmak (dini olarak zekat, sadaka vb.yi alabilir durumda olmak) * **zekat lê diçe** zekata muhtaç **8.** masraf olunmak
**lêçûnî** *m* benzerlik, benzeme, benzeyiş
**lê çûn û hatin** *l/bw* **1.** gezinmek, dolaşmak **2.** *mzk* gezinmek
**lêçûn û jêhatin** *bz/nd* girdi çıktı, girdisi çıktısı (bir şeyin gelir ve gideri)
**lêçûyî** *rd* **1.** çekinik, resesif **2.** masruf, masraf edilmiş
**lêçûyîn** *m* **1.** ilerleyiş (bulunduğu yerden daha ileriye gitme, yol alma) **2.** benzeyiş **3.** benzeyiş, çekiş (birinin ailesinde birine herhangi bir bakımdan benzeme) **4.** pavkırış (alev alev yanma, alev bir yere doğru yönelme) **5.** tutuşma, ateş alma **6.** kaçırma (zamanında yapamama) **7.** muhtaç olma (dini olarak zekat, sadaka vb.yi alabilir durumda olma) **8.** masraf oluş
**lêdagerandin** *m* **1.** geri döndürme **2.** döndürme, dönüştürmek **3.** *kîm/mat* indirgeme
**lê dagerandin** *l/gh* **1.** geri döndürmek **2.** döndürmek, dönüştürmek **3.** *kîm/mat* indirgemek
**lêdagerîn** *m* **1.** geri dönme **2.** dönme, dönüşme (-e dönme, bir şeyi andıracak duruma gelmek, benzeme) **3.** indirgenme
**lê dagerîn** *l/ngh* **1.** geri dönmek **2.** dönmek, dönüşmek (-e dönmek, bir şeyi andıracak duruma gelmek, benzemek) **3.** indirgenmek
**lêdan** *m* **1.** dövme, vurma, vuruş, dayak **2.** dövme, vurma (çarpma) **3.** vurma (ses çıkarmak için bir şeyi başka bir şey üzerine hızlıca değdirme) **3.** vurma (sürme) **4.** vurma (bağlama, takma, koyma) **5.** vurma (batıcı veya kesici cisimleri saplama, kakma) **6.** vurma (uygulama, basma, koyma) **7.** vurma, çarpma, atış (kalp, nabız, kan dolaşımı ile ilgili organlar vurma) **8.** vurma, tutturma (değdirme, isabet etme, amaçladığı şeye tam vurma) **9.** vurma (hızla çarpma) **10.** vurma (silâhla yaralama, öldürme) **11.** vurma, çarpma (dokunma, hasta etme) **12.** vurma (soğuk, dolu gibi şeyler için; zarar verme) **13.** vurma, çarpma (vurur durumunda olma) **14.** *mzk* çalma, vurma, vuruş (vurarak ses çıkarma) * **lêdana saz** saz çalma **15.** çalma (bir müziği dinlemeyi sağlayan aleti çalıştırma) **16.** çalma (ses çıkarma, ses verme) **17.** çalma, vurma (bozma, zarar verme) **18.** vurma, basma (bir şey üzerinde kalıp, mühür gibi araçlarla iz bırakma) **19.** basma (tokat vurma) **20.** çekme (boya, badan vb. sürme) **21.** çekme (şişe, sülük, vantuz için; tedavi amacıyla uygulama) **22.** yarma (içinden geçme) **23.** çarpma (hızla bir yere vurma) **24.** çarpma, uğrama (varlığına inanılan bir gücün öfkesine uğrama, cin, peri çarpma) **25.** takma (fiş takma, pencere, kapı vb.yi takma) **26.** *mat* çarpma (çarpa işlemi) ~ **heqkirî** dayak düşkünü (veya kaçkını) **27.** *der* vurgun **28.** *tek* vuruş ~**a dil** yürek çarpıntısı, kalp atışı ~**a li nav rastê** meydan dayağı
**lê dan** *l/gh* **1.** dövmek, vurmak (vurarak canını acıtmak, dayak atmak, dayak çekmek) * **min têra dilê xwe lê da** doyasıya onu dövdüm * **li serê wê da** başına vurdu * **lêdaneke têr baş lê da** ona güzel bir dayak çekti **2.** dövmek, vurmak (çarpmak) * **piyên xwe li avê dida û masî ditirsandin** ayaklarıyla suyu dövüyor balıkları ürkütüyordu **3.** vurmak (ses çıkarmak için bir şeyi başka bir şey üzerine hızlıca değdirmek) * **bêyî ku li derî bide kete hundir** kapıyı vurmadan içeri girdi **3.** vurmak (sürmek) * **cîla li texte da** tahtaya cila vurdu **4.** vurmak (bağlamak, takmak, koymak) * **kelemçe li destên wî dane** ellerine kelepçe vurmuşlar **5.** vurmak (batıcı veya kesici cisimleri saplamak, kakmak) * **derzî lê dan** iğne vurmak **6.** vurmak (uygulamak, basmak, koymak) * **demxe lê dan** damga vurmak **7.** vurmak, çarpmak, atmak (kalp, nabız, kan dolaşımı ile ilgili organlar vurmak) * **dilê wî lê dide** kalbi vuruyor **8.** vurmak, tutturmak (değdirmek, isabet etmek, amaçladığı şeye tam vurmak) * **li armancê da** hedefi vurdu * **kevir dakir lê belê lê neda** taşı attı ama tutturamadı **9.** vurmak (hızla çarpmak) * **lingê xwe li erdê da** ayağını yere vurdu **10.** vurmak (silâhla yaralamak, öldürmek) **11.** vurmak, çarpmak (dokunmak, hasta etmek) * **tavê li serê wê daye** güneş başına vurmuş * **tavê lê da** güneş çarptı **12.** vurmak (soğuk, dolu gibi şeyler için; zarar vermek) * **zîpikê lê daye** dolu vurmuş **13.** vurmak (vurur durumunda olmak) * **dilê wê hê jî lê dide** kalbi hâlâ vuruyor **14.** çalmak (vurarak ses çıkarmak) * **muzîkeke xweş lê dide** güzel müzik çalıyordu * **têr baş li piyanoyê dide** çok iyi derecede piyano çalar **15.** çalmak (bir müziği dinlemeyi sağlayan aleti çalıştırmak) * **ca li teybê bide em hinek li muzîkê guhdarî bikin** teybi çal da biraz müzik dinleyelim **16.** çalmak (ses çıkarmak, ses vermek) * **li odeya rex têlefonê lê dida** yan odada telefon çalıyordu **17.** çalmak, vurmak (bozmak, zarar vermek) * **qirê li balîcanê daye** patlıcanı kırağı çalmış **18.** vurmak, basmak (bir şey üzerinde kalıp, mühür gibi araçlarla iz bırakmak) * **tiliya xwe li vir bide** buraya parmağını bas **19.** basmak (tokat vurmak) * **şeqamek lê da** tokadı bastı **20.** çekmek (boya, badan vb. sürmek) * **qatek boyaxa din jî lê bide** bir kat boya daha çek **21.** çekmek (şişe, sülük, vantuz için; tedavi amacıyla uygulamak) * **hicam lê dan** ona vantüz çektiler **22.** yarmak (içinden geçmek) * keştiyê li

avê da gemi suyu yardı **23.** çarpmak (hızla bir yere vurmak) * **bayê guliyên darê li dîwêr dida** rüzgar ağaç dallarını duvara çarpıyordu **24.** çarpmak, uğramak (varlığına inanılan bir gücün öfkesine uğramak, cin, peri çarpmak) * **cinan li wî da** onu cin çarptı **25.** takmak (fiş, kapı, pencere vb. için) * **fîş lê bide** fişi tak **26.** *mat* çarpmak ~ **ava stûr** (birine) engel çıkarmak, (birini) zora koşmak, işi yokuşa sürmek ~ **çekan** (birine) silâh çekmek ~ **çûn** basıp gitmek ~ **demançe** (birine) tabanca çekmek ~ **gerandin** -e dolaştırmak ~ **gurmistan** (birine) yumruk göstermek ~ **halanan 1)** (birine meydan okumak) **2)** çatışmaya teşvik etmek ~ **hisandin** dinletmek ~ **kêrê** (birine) bıçak çekmek ~ **kulmê** (birine) yumruk göstermek ~ **mandeleyê** inkar etmek ~ **mêzandin** baktırmak ~ **nifiran** (birine) bedduadan bulunmak ~ **nihartin** (an jî **nihêrtin**) baktırmak ~ **xwarin** dayak yemek, kötek yemek, pataklanmak

**lêdanandin** *m* **1.** koyma **2.** koyma, isim koyma

**lê danandin** *l/gh* **1.** koymak * **şîv lê danand** akşam yemeğini ateşe koydu **2.** koymak, isim koymak

**lê dan çek** *l/bw* (birine) silâh çekmek

**lê dan der** *l/bw* **1.** dışarı vermek **2.** sızmak * **avê lê daye der** su sızmış

**lê dan gefan** *l/bw* (birine) tehdit (ler) savurmak

**lê dan hev** *l/bw* büzdürmek

**lêdanîn** *m* **1.** konma (kuş, kelebek, uçak, toz vb. için, bir yere inme) **2.** ad koyma, takma (ad, lakâp koyma) **3.** oturtma, başlık koyma **4.** çöreklenme

**lê danîn** *l/gh* **1.** konmak (kuş, kelebek, uçak, toz vb. için, bir yere inmek) * **mêş û moran xwe lê danîbûn** üzerine bürtü böcek konmuştu **2.** ad koymak, takmak (ad, lakâp koymak) **3.** oturtmak, başlık koymak * **min pêşî rahişt qelemê û sernivîsek lê danî** aldım kalemi önce bir başlık oturttum **4.** çöreklenmek * **hat lê danî û neçû** geldi çöreklendi, gitmek bilmedi

**lêdankar** *nd/nt* dayakçı, dayak atıcı

**lêdankarî** *m* dayakçılık, dayak atıcılık

**lê dan kêrê** *l/bw* (birine) bıçak çekmek

**lê dan nihêrtin** *l/lb* baktırmak

**lê dan qîran** *l/bw* (birine) bağırmak (yüksek sesle azarlamak

**lê dan sîleh** *l/bw* (birine) silâh çekmek

**lê dan şoran** *l/bw* (birine) küfürler savurmak

**lêdanxur** *nd/nt* dayak yiyici

**lêdanxwar** *nd/nt* dayak yiyici

**lêdanxwarin** *m* dayak yeme

**lêdan xwarin** *l/gh* dayak yemek

**lêdanxwarî** *m* **1.** dayak yeme **2.** *rd* dayak yemiş, dövülmüş kimse

**lê dawe kirin** *l/bw* (birini) dava etmek (veya açmak)

**lêdayek** *m* çıkartma, strikır

**lêdayî** *rd* **1.** vuruk (darbe yemiş olan) **2.** takılı (kapı, pencere vb. şeyler için) * **fîş lêdayî ye hay jê bî** fiş takılı dikkatlı ol

**lêdayîn** *m* **1.** vuruş, (dövme, dayak atma) **2.** çalış (müzik aletlerini çalma) **3.** vuruş, atış (kalp, nabız vb. için)

**lêder** *nd/nt* **1.** çalgıcı, çalıcı, çalan (enstrüman çalan kimse) * **lêderê klarnetê** klarnetçi **2.** icracı (esseri çalan kimse) **3.** *rd* çalar **4.** vurucu **5.** çarpan

**lêdera hevpar** *mat/nd* ortak çarpan

**lêderbasbûn** *m* kaçırma (bir işi belirlenen zamanda yapmama)

**lê derbas bûn** *l/bw* kaçırma (bir işi belirlenen zamanda yapmamak)

**lêderî** *m* **1.** çalgıcılık **2.** icracılık

**lê dek û dolab gerandin** *l/bw* birine düzen kurmak

**lêderbûn** *m* **1.** başına üşüşme **2.** mantar gibi yerden bitme

**lê derbûn** *l/ngh* **1.** başına üşüşmek * **mêş li me der bûn** arılar başımıza üşüştü **2.** mantar gibi yerden bitmek

**lêderketin** *m* çıkagelme

**lê derketin** *l/ngh* çıkagelmek * **tê bîra te li mêrgê boxeyek li me derketibû** hatırlar mısın çayırda bir boğa çıkagelmişti

**lê derxistin** *l/gh* yaptıklarını birine itiraf ettirmek

**lêdijwarhatin** *m* (birine) güç gelme, zor gellme

**lê dijwar hatin** *l/bw* (birine) güç gelmek, zor gellmek

**lêdiwan** *m* açıklama, yorum

**lêdozvekirin** *m* (birini) dava etme (veya açma)

**lê doz vekirin** *l/bw* (birini) dava etmek (veya açmak)

**lêecelekirin** *m* **1.** aceleye getirme **2.** emrivaki yapma **3.** sıkıştırma, dara getirme

**lê ecele kirin** *l/bw* **1.** aceleye getirmek **2.** emrivaki yapmak **3.** sıkıştırmak, dara getirmek

**lêecêbman** *m* (birine veya bir şeye) şaşa kalma, hayret etme

**lê ecêb man** *l/bw* (birine veya bir şeye) şaşa kalmak, hayret etmek

**lê ecêbmayî** *rd* şaşılası

**lêecêbmayîbûn** *m* şaşakalma

**lê ecêbmayî bûn** *l/bw* şaşakalmak

**lêefsûnkirin** *m* (birini) büyüleme

**lê efsûn kirin** *l/bw* (birini) büyülemek

**lêeyanbûn** *m* **1.** (birine) beyan olma **2.** içine doğma

**lê eyan bûn** *l/bw* **1.** (birine) beyan olmak **2.** içine doğmak

**lêêwirîn** *m* **1.** üşüşme **2.** toplaşma **3.** konumlanma

**lê êwirîn** *l/ngh* 1. üşüşmek 2. toplaşmak 3. konumlanmak
**lêf** *erd/n* yamaç ~ û ~ yamaç yamaç * **lêf û lêf çûn** yamaç yamaç gitti
**lêfedkirin** *m* 1. (birine veya bir şeye) bakma 2. bakına (bir şeyin gelişmesi veya iyi bir durumda kalması için emek verme) 3. bakma (besleme, geçindirme) 4. bakma (hasta için muayene etme, tedavi etme)
**lê fedkirin** *l/gh* 1. (birine veya bir şeye) bakmak 2. bakmak (bir şeyin gelişmesi veya iyi bir durumda kalması için emek vermek) 3. bakmak (beslemek, geçindirmek) 4. bakmak (hasta için muayene etmek, tedavi etmek) * **doktorê ku me ew anî têr baş li nexweşa me fedkirî** getirdiğimiz doktor hastamıza iyicene baktı
**lê ferman bûn** *l/bw* (birine) ölüm, sürgün veya felaketi olmak
**lêferzker** *rd/nd* dayatmacı
**lêferzkerî** *m* dayatmacılık
**lêferzkirin** *m* (birine) dayatma, farzetme
**lêferzkirin** *l/bw* (birine) dayatmak, farzetmek * **dixwazin poşmaniyê li wan ferz bikin** pişmanlığı dayatmak istiyorlar
**lê fetilandin** *m* 1. (bir şeyi veya kimseyi) geri gönderme 2. geri çevirme, geri verme, iade etme 3. mukabele etme 4. karşılık verme, misilemede bulunma
**lê fetilandin** *l/gh* 1. (bir şeyi veya kimseyi) geri göndermek 2. geri çevirmek, geri vermek, iade etmek 3. mukabele etmek 4. karşılık vermek, misilemede bulunmak
**lêfetilîn** *m* 1. dönme, geri dönme 2. (birine veya bir şeye) dönme (-e yönelme) 3. dönme (-den sapma) 4. çevrilme (kendini çevirme) 5. dönme (-e dönme, bir şeyi andıracak duruma gelme, benzeme) 6. mukabele (karşılıklı yapılan okuma)
**lê fetilîn** *l/gh* 1. dönmek, geri dönmek 2. (birine veya bir şeye) dönmek (-e yönelmek) * **li min fetilî û awireke tûj veda** bana dönüp sert bir bakış fırlattı 3. dönmek (-den sapmak) * **gava ku tu li goşe fetilî, rast here mala pêşîn a ku derkeve ser riya te** köşeyi dönünce karşına çıkacak eve git 4. çevrilmek (kendini çevirmek) * **her bedewa ku te dît lê mefetile** her gördüğün güzele çevrilme 5. dönmek (-e dönmek, bir şeyi andıracak duruma gelmek, benzemek) 6. mukabele etmek (karşılıklı okumak)
**lêfikirandin** *m* 1. (birini) düşündürme 2. aklına getirme 3. üstünde yoğunlaştırma
**lê fikirandin** *l/bw* 1. (birini) düşündürmek 2. aklına getirmek 3. üstünde yoğunlaştırmak
**lêfikirîn** *m* 1. (birini veya bir şeyi) düşünme 2. düşünme (bir şeye karşı ilgili ve titiz davranma) 3. aklına getirme 4. üstüne yoğunlaşma
**lê fikirîn** *l/ngh* 1. (birini veya bir şeyi) düşünmek 2. düşünmek (bir şeye karşı ilgili ve titiz davranmak) * **hinek li dersên xwe bifikire** biraz da derslerini düşün! 3. aklına getirmek * **lê nafikire ku wê dawiya vî karî çi be** bu işin sonu nereye varacağını aklına getirmiyor 4. üstüne yoğunlaşmak
**lê fors kirin** *l/bw* afi kesmek (satmak veya yapmak)
**lê galîn** *l/ngh* habire laf saymak, küfretmek
**lêger** *nd/nt* 1. araştırıcı, araştırman 2. arayıcı * **lêgerê zêr** altın arayıcısı
**lêgeran** *m* 1. arama, arayış 2. araştırı, araştırma 3. arama tarama 4. açınsama, istikşaf
**lêgerandin** *m* 1. (bir yeri) gezdirme (tanıtmak amacıyla gezdirme) 2. dolaştırma 3. kurma (gizlice hazırlama, tasarlama) 4. dolandırma (bir şeyin çevresinde dolandırma) 5. arama 6. araştırma
**lê gerandin** *l/gh* 1. (bir yeri) gezdirmek (tanıtmak amacıyla gezdirmek) * **ez dê te li çarşiyê bigerînim** sana çarşıyı gezdireceğim 2. dolaştırmak 3. kurmak (gizlice hazırlamak, tasarlamak) * **dolap lê gerandin** dolap kurmak 4. dolandırmak (bir şeyin çevresinde dolandırmak) 5. aramak 6. araştırmak
**lêgeriyan** 1. gezme 2. dolaşma 3. arayış 4. araştırma
**lêgerî** *m* 1. araştırıcılık, araştırmanlık 2. arayıcılık
**lêgerîn** *m* 1. arama (birini veya bir şeyi bulmaya çalışma) 2. arama (bir yöntemi bulmaya çalışma) 3. arama (bir şeyin yokluğunu duyarak geri gelmesini isteme, özleme) 4. gezme (bir yeri görüp inceleme) 5. gezme (bir yerde gezi yapma) 6. dolaşma 7. *mzk* gezinme, dolaşma 8. açınsama, istikşaf etme (bir yerin özeliklerini ortaya çıkarmak için araştırma ve inceleme yapma) 9. araştırma (bir gerçeği ortaya çıkarmak için aramalarda bulunma, sorma, soruşturma) 10. araştırma, araştırı (bilimde ve sanatta yöntemli çalışmalar yapma) 11. inceleme, araştırma, etüt etme 12. *mec* arama, tarama, tarayış (araştırmak için gözden geçirme) 13. görücüye çıkma (kız isteme) 14. bulaşma (herhangi bir şey birine bulaşma) ~ **û sehîkirin** arama tarama ~**a meclîsê** meclis araştırması
**lê gerîn** *l/gh* 1. aramak (birini veya bir şeyi bulmaya çalışmak) * **li hundirê dikanê bi çavan li tiştan geriya** dükkanın içinde gözleriyle bir şeyler aradı 2. aramak (bir yöntemi bulmaya çalışmak) * **ji bo ku li fabrîkayê hilberînê zêde bikin li azîneke nû digerin** fabrikada üretimi artırmak için yeni yöntem arıyorlar 3. aramak (bir şeyin yokluğunu duyarak geri gelmesini istemek, özlemek) * **ez pir li te digerim, hevalo** seni çok arıyorum, arkadaş 4. gezmek (bir yeri görüp

**wan bistînin** ahmaka yüz, abdala söz vermeye gelmez ~ **bist** ~ **kebab** ne şiş yansın ne kebab ~ **cih e** ~ **war e** ne oda var ne ocak ~ **cih e** ~ **war e, li ku bim li wê me** nerede akşam orada sabah ~ **çira ji koran re** ~ **dahol ji keran re** ne köre ışık ne de sağıra davul ~ **dada ye** ~ **baba ye seriyekî bereda ye** başında ne anası olmuş ne de babası olmuş, başıboş büyümüş ~ **deng e,** ~ **beng e** ne ses ne seda ~ **destê (wî) digihîjê** ~ **jî qeweta (wî)** eli ermez gücü yetmez ~ **di dînan in,** ~ **jî qûna xwe bidin wan** köpekle yatan pire ile kalkar ~ **diz im** ~ **kuz im** ne öyleyim ne böyleyim kendim gibiyim ~ **dixwe** ~ **dide hevalan genî dike diavêje newalan** ne kendisi yer ne başkasına yedirir, çürütüp çöpe atar anlamında bir deyim ~ **dixwim gelyazan ne didim hevrazan** ne şeytanı gör ne kuluvallahı oku ~ **elenî** ~ **seleniya (yekî)** ne lehte ne alehte ~ **em bûn bûk û** ~ **jî em li keran siwar bûn** güvey olmadık ama kapı dışında bekledik (alay yolu ile) ~ **em li mezelan e,** ~ **heta ku em xewnan bibînim** al giymedim ki alınayım ~ **ez li mezelan razame** ~ **ku ez xewnan bibînim** sarımsak yemedim ki ağzım koksun, çiğ yemedim ki karnım ağrısın ~ **gund hiştin** ~ **bajar** ne altını bırakmak ne üstünü ~ **hed e** ~ **hesab e** hesabı yok (sayılamayacak kadar çok, sayısız) ~ **hilanîn** ~ **danîn 1)** bir dediğini iki etmemek **2)** çıt çıkarmamak, sesini çıkarmamak **3)** söz konusu bile etmemek ~ **hilanîn û** ~ **jî danîn** bnr ne hilanîn ne danîn ~ **hilimîn** ~ **jî kilimîn** çıt çıkarmamak * **mêrik kete hundir, ne hilimî ne jî kilimî** adam içeri girdi çıt çıkarmadı ~ **hilimîn** ~ **kilimîn** ağzından çıt çıkmamak, gıkı çıkmamak, tek kelime etmemek * **mêrik ew çend pê de qîriya bariye ne hilimî ne kilimî** adam o kadar ona bağırıp çağırdı gıkı çıkmadı ~ **hilîne** ~ **deyne** söz konusu bile yapma ~ **ji nêzik û** ~**jî ji dûr ve** uzaktan yakından ~ **ji te his** ~ **ji me pis** (an jî **deng)** kapatalım, meseleyi hiç eşelemeyelim ~ **jina kenokî** ~ **fediyokî** ne herkese gülen ne de herkesten çekinen kadın lazım, anlamında bir deyim ~ **kafî** yetersiz ~ **kara (wî) digihîje meriv** ~ **zerara (wî)** (tavşan boku gibi) ne kokar ne bulaşır ~ **ker ket** ~ **hîz çiriya** sanki hiç bir şey olmamış gibi... ~ **kerekî** ~ **perekî di mala (wî) de tune** iki hırtı bir pırtı ~ **kêm** ~ **zêde 1)** ne eksik ne fazla **2)** efratını cami, ağyarını mani ~ **malekî** ~ **bi halekî** herkesin tenceresi kapalı kaynar ~ **malê bike ji kurê çê re**~**bike ji kurê xerab re** ne iyi evlada ne de kötü olana ev bark yapmamak lazım, anlamında bir deyim ~ **malê pir** ~ **gerdena stûr** fazla mala gerek yok, anlamında bir deyim ~ **me jê ye** ~ **me pê ye!** anasını eşek kovalasın! ~ **min jê ye** ~ **min pê ye** keyif benim köy Mehmet ağanın ~ **qenc** ~ **xerab 1)** ne iyi ne kötü **2)** *mec* uzaktan yakından ~ **qenciyê bi dînan re bikin** ~ **jî xerabiyê** ahmaka yüz, abdala söz vermeye gelmez ~ **rêç heye** ~ **şop** hiçbir iz yok, hiçbir delil yok, ne izi var ne belirti ~ **rokir û** ~ **pîva** *h* körü körüne ~ **sawan û** ~ **jî pawan jê re tune bûn** hartası hurtası olmamak ~ **serî bûn ne binî** ucu bucağı olmamak (veya görünmemek) * **ew deştên ku ne serî bûn û ne jî binî** o ucu bucağı olmayan ovalar ~ **serî hebûn** ~ **jî binî** ucu bucağı olmamak (veya görünmemek) * **ew deştên ku ne serî û ne jî binî hene** o ucu bucağı olmayan ovalar ~ **serî hiştin** ~ **binî** ne altını bırakmak ne üstünü * **em hingî geriyan me ne serê bajêr hişt ne binî** geze dolaşa şehrin ne altını bıraktık ne üstünü ~ **serî ye** ~ **binî ye 1)** bitmez tükenmez (veya bitip tükenmez) **2)** ucu ortası belli olmamak (iş için) ~ **şekirê Şamê** ~ **jî rûyê Ereb** ne Şamın'ın şekeri ne Arab'ın zekeri (veya yüzü) ~ **şeytan bibîne** ~ **jî lenet lê bîne** ne şeytanı gör ne de kuluvellahı oku ~ **şîş** ~ **kebab** ne şiş yansın ne kebab ~ **tehl** ~ **şîrîn** orta şekerli ~ **tê avêtin** ~ **jî tê firotin** atsan atılmaz satsan satılmaz ~ **tê hiştin** ~ **tê kuştin** atsan atılmaz satsan satılmaz ~ **tir kir** ~ **bêhn da** pişkin kimse olmak ~ **xan dike** ~ **xerab dike** ne aç bırakır ne de tok ~ **xew** ~ **hew** uyku durak (yok veya uyku nedir bilmeden) ~ **xwe ji dêrê dike** ~ **ji mizgeftê** hem İsa'yı hem de Musa'yı memnun etmek ~ **xweş** ~ **xweş** pis pis

**ne (III)** *b* ha (soru bildirir) * **tu hatî ne?** geldin ha?

**neadil** *rd* adaletsiz

**neadilî** *m* adaletsizlik

**neafirîner** *rd* yaratıcı olmayan

**neaheng** *rd* uyumsuz

**neahengî** *m* uyumsuzluk

**neal** *rd* kavgacı

**nealî** *m* kavgacılık

**nealîgir** *rd* **1.** tarafsız **2.** bağlantısız (herhangi bir bloka bağlı olmayan devlet)

**nealîgirî** *m* **1.** tarafsızlık **2.** bağlantısızlık

**nealoz** *rd* çetrefilli

**neam** *zo/m* deve kuşu

**neanîn ser eynê xwe** *l/bw* renk vermemek (veya rengini beli etmemek), bozuntuya vermemek

**neanîn ser xwe** *l/bw* renk vermemek (veya rengini beli etmemek), çaktırmamak

**neaqlî** *fel/rd* akıl dışı, gayri aklî

**nearam** *rd* istikrarsız, karışıklık

**nearamî** m istikrarsızlık, huzursuzluk

**nearizî** *rd* paydaşlı

**neasan** *rd* rahatsız (sıkıntı, tedirginlik veren)

**neasayî** *rd* olağanüstü, anormal, olağan dışı, fevkalede

**neasayîbûn** *m* anormalleşme
**neasayî bûn** *l/ngh* anormalleşmek
**neasayîkirin** *m* anormalleştirme
**neasayî kirin** *l/gh* anormalleştirmek
**neasayîtî** olağanüstülük, anormallık
**neasûde** *rd* huzursuz
**neasûdetî** *m* huzursuzluk
**neaşkera** *rd* **1.** bellisiz **2.** anlaşılmaz, gayri vazılı
**neavsûnkirî** *rd* şerbetsiz (yılan vb. hayvanların sokmasına karşı şerbetli olmayan)
**neaxivî** *rd* yangısız, iltihapsız
**neayîl** *rd* haksız
**neayîlî** *m* haksızlık ~ **kirin** haksızlık etmek
**neazardedil** *rd* sıkıntısız
**neazwer** *rd* hırssız
**nebabet** *rd* yakışıksız
**nebadayî** *rd* burmasız
**nebalix** *rd* kendini bilmez
**neban (I)** *rd* **1.** görünmez **2.** bilinmez **3.** giz
**neban (II)** *rd* **1.** alışık olmayan **2.** yavrusunu emzirmeyen hayvan
**nebanek** golika nebanek
**nebanek** golika nebanek
**nebanek** *rd* **1.** alışık olmayan **2.** yavrusunu emzirmeyen hayvan
**nebanekî** *rd* **1.** alışık olmama **2.** yavrusunu emzirmeme
**nebanektî** *bnr* nebanekî
**nebanî** *m* **1.** görünmezlik **2.** bilinmezlik
**nebaş** *rd* **1.** kötü (iyi karşıtı) **2.** kötü (hoşa gitmeyen) **3.** kötü (az, yetersiz) * **xebateke nebaş** kötü bir çalışma **4.** fena (kişiler için, istenilen ve gereken nitelikte olmayan) * **xwendekareke nebaş e** fena bir öğrenci **5.** kötü, sapık ~ **çêbûn** kötü olmak (olumsuz bir durum olmak)
**nebaşî** *m* kötülük ~ **kirin** kötülük etmek (veya kötülük yapmak)
**nebat** *bot/m* nebat, bitki
**nebatat** *nd* nebatat
**nebatî** *rd* nebatî, bitkisel
**nebatokî** *rd* bitkimsi
**nebe** *h* sakın * **nebe ku nexweş be!** sakın hasta olmasın! ~ ~ çok çok, hiç olmasa * **nebe nebe em dê herin** çok çok biz gideriz
**nebekar** *rd* suçlu
**nebekarî** suç
**nebeled** *rd* **1.** bilmeyen **2.** cahil
**nebeledî** *m* **1.** bilmeme **2.** cahillik
**nebe nebe** *h* çok çok, hiç olmasa * **nebe nebe em dê herin** çok çokbiz gideriz
**nebera** *rd* **1.** gerçek olmayan **2.** eğreti (gerçek olmayan)
**neberbawer** *rd* güvenilmez
**neberbawerî** *m* güvenilmezlik
**neberbiçav** *rd* **1.** sönük (silik kimse) * **mirovekî neberbiçav** sönük bir adam **2.** soyut
**neberbiçavbûn** *m* sönükleşme
**neberbiçav bûn** *l/ngh* sönükleşmek
**neberbiçavî** *m* sönüklük
**neberbihêr** *rd* **1.** geçimsiz, hırıltıcı * **mirovekî neberbihêr e** geçimsiz bir insan **2.** hazımsız (yersiz davranışlara karşı susmak elinden gelmeyen kimse) ~ **bûn** geçimsiz olmak
**neberbihêrbûn** *m* geçimsizleşme
**neberbihêr bûn** *l/ngh* geçimsizleşmek
**neberbihêrî** *m* geçimsizlik
**neberçavî** *rd* görünmez
**neberfehm** *rd* anlayışsız, düşüncesiz, izansız
**neberfehmî** *m* anlayışsızlık, düşüncesizlik, izansızlık
**nebergda** *rz/rd* geçişsiz
**nebergkirî** *rd* ciltsiz, ciltlenmemiş olan
**neberhev** *rd* dağınık, düzensiz
**neberhevî** dağınıklık, düzensizlik
**neberhevkirî** *rd* devşirimsiz
**neberketî** *rd* üzülmemiş olan
**neberpirs** *rd* sorumsuz, sorumlu olmayan, gayri mesul
**neberpirsane** *h* sorumsuzca
**neberpirsiyarane** *h* sorumsuzca
**neberpirsî** *m* sorumsuzluk
**neberpirskî** *rd* sorumsuzca
**neberpirsyar** *rd* sorumsuz
**neberpirsyarane** *h* sorumsuzca
**neberpirsyarî** *m* sorumsuzluk
**neberpirsyarkî** *rd* sorumsuzca
**nebes** *rd* yetersiz, gayri kâfi
**nebesatî** *m* yetersizlik
**nebesbûn** *rd* yetersiz
**nebesbûnî** *m* yetersizsizlik
**nebesî** *m* yetersizlik
**nebewî** *rd* nebevî (Hz. Muhammed ile gilgili, Hz. Muhammed'e ilişkin)
**nebexişandin** *m* bağışlamama, affetmeme
**nebexişandin** *l/gh* bağışlamamak, affetmemek
**nebexişandî** *rd* bağışlanmamış, affedilmemiş olan
**nebextyar** *rd* mutsuz
**nebextyarî** *m* mutsuzluk
**nebez** *rd* **1.** yılmaz **2.** yavuz
**nebezbûn** *m* **1.** yılmazlaşma **2.** yavuzlaşma, yavuzlanma
**nebez bûn** *l/ngh* **1.** yılmazlaşmak **2.** yavuzlaşmak, yavuzlanmak
**nebezî** *m* **1.** yılmazlık **2.** yavuzluk
**nebidestêxwe** *rd* bağımlı
**ne bi destê xwe bûn** *l/bw* bağımlı olmamak
**ne bi dilê xwe** *rd/h* kerhen, zoraki
**ne bi diya xwe bûn** *l/bw* **1.** korkağın teki olmak, ödlek teki olmak **2.** bir hiç olmak
**nebihêrbar** *rd* geçirimsiz
**nebihêrbarî** *m* geçirimsizlik
**nebihengam** *rd* yersiz, uygunsuz, münasebetsiz
**nebihengamî** *m* yersizlik, uygunsuzluk, münasebetsizlik

**nebihingam** *bnr* nebihengam
**nebihingan** *bnr* nebihengam
**nebihîstî** *rd* duyulmadık, duyulmamış, işitilmedik, işitilmemiş
**nebihîzyar** *rd* duyarsız
**nebihîzyarî** *m* duyarsızlık
**nebihurbar** *rd* geçirimsiz
**nebihurbarî** *m* geçirimsizlik
**nebijok** *rd* iştahsız
**nebijokî** *m* iştahsızlık
**nebijûn** *rd* **1.** sağlıksız **2.** verimsiz
**nebijûnî** *m* **1.** sağlıksızlık **2.** verimsizlik
**nebikarbar** *rd* kullanışsız
**nebikarbarî** *m* kullanışsızlık
**nebikeys** *rd* **1.** tuhaf, tahtası eksik **2.** dağınık, pejmürde **3.** sağlam ayakkabı olmayan
**ne bi keys bûn** *l/bw* **1.** tuhaf biri olmak, tahtası eksik olmak **2.** sağlam papuç olmamak * **jinikeke ne bi keys bû** sağlam papuç olmayan bir kadındı
**nebikêr** *rd* beceriksiz
**nebikêrhatî** *rd* **1.** yaramaz, faydasız **2.** beceriksiz
**nebikêrhatîbûn** *m* beceriksizlik
**nebinavkirî** *rz/rd* belirsiz, belgisiz, belirtisiz
**nebinavkirîtî** *rz/m* belirsizlik, belgisizlik
**nebir** *rd* kör (keskin olmayan)
**nebirê** *rd* cinsi sapık
**nebirêtî** *m* cinsi sapıklık
**nebiserêxwe** *rd* bağımlı
**ne bi serê xwe bûn** *l/bw* bağımlı olmak
**nebixêr** *rd* **1.** hayırsız **2.** hayırsız, yaramaz
**nebixêr bûn** *l/ngh* beğenmemek (kuşku duymak, kuşku ile karşılamak) * **dawiya vî karî nebixêr** e ben bu işin sonunu beğenmiyorum
**nebizmareyî** *rd* nasırsız
**nebî** *nd/nt* torun
**nebî (II)** *n* nebi, peygamber
**nebî (III)** *m* **1.** iftira **2.** yalan (uydurma, gerçeği olmayan) ~ **kirin 1)** iftira etmek **2)** yalan atmak (veya kıvırmak) ~ **lê bûn** iftiraya uğramak ~ **lê kirin** (birine) iftira atmak ~ **li (yekî) kirin** (birine) iftirada bulunmak ~ **pê de anîn** (birine) iftirada bulunmak ~ **pê de hatin** iftiraya uğramak
**nebî (IV)** *h* **1.** sakın **2.** sakın, deme * **nebî ku tu devê xwe vekî ha, dê ya nemayê bê serê te** ağzını açayım deme, çok fena olursun ~ **ha** sakın ha!, zinhar * **nebî ha, tu malê nefiroşî** sakın ha, evi satmayasın ~ ~! sakın sakın!, sakın ha!
**nebîk** *nd/nt* torun
**nebîker** *rd/nd* iftiracı, karacı, müfteri,
**nebîkerî** *m* iftiracılık, karacılık
**nebîkirin** *m* iftira etme
**nebî kirin** *l/gh* iftira etmek
**nebî lê kirin** *l/bw* (birine) kara çalmak
**nebîna (I)** *rd* nadide
**nebîna (II)** *rd* âmâ, görmez, kör
**nebînatî** *m* âmâlık, görmezlik, körlük
**nebînayî** *m* âmâlık, görmemezlik
**nebî pê de hatin** *l/bw* iftiraya uğramak
**nebîranî** *m* aşerme
**nebîranîkirin** aşerme
**nebîranî kirin** *l/gh* aş ermek, aş yermek
**nebîrbir** *rd* **1.** anlayışsız, düşüncesiz, izansız **2.** bilinçsiz (kendi etkinliğini eleştirmeli bir biçimde sezmeyen)
**nebîrbirane** *h* **1.** anlayışsızca, düşüncesizce, izansızca **2.** bilinçsizce
**nebîrbirî** *m* **1.** anlayışsızlık, düşüncesizlik, izansızlık **2.** bilinçsizlik
**nebîrewer** *rd* **1.** anlayışsız, düşüncesiz, izansız, idraksız **2.** bilinçsiz (kendi etkinliğini eleştirmeli bir biçimde sezmeyen)
**nebîrewerane** *h* **1.** anlayışsızca, düşüncesizce, izansızca **2.** bilinçsizce
**nebîrewerî** *m* **1.** anlayışsızlık, düşüncesizlik, izansızlık **2.** bilinçsizlik
**nebîzokî** *rd* midesiz (hiçbir şeyden tiksinmeyen)
**nebotî** *rd* çok dayak yemiş olan
**neboyaxkirî** *rd* boyasız (boya sürülmemiş, boyalanmamış olan)
**nebuloz** *ast/m* bulutsu
**nebû** *m* iftira ~ **li miriyan dibe li zindiyan nabe** ölüler iftiraya uğrayabilir sağ olanlar değil, anlamında bir deyim
**nebûkar** *nd/nt* iftiracı, karacı
**nebûkarî** *m* iftiracılık, karacılık
**nebûn** *m* **1.** çekilmez olma **2.** olmama
**nebûn** *l/ngh* **1.** çekilmez olmak **2.** olmamak * **tu heycar nabî** sen artık çekilmiyorsun!
**nebûnî** *m* **1.** yokluk (varlık karşıtı) **2.** *man* olmazlık
**nebûyî** *rd* **1.** olmamış görülmemiş **2.** olmadık
**nebz** *bj/m* nabız
necar *nd/nt* marangoz, dülger binive wekî her car Xwedê yek e delîl (kilîl an ji dergeh) hezar ya deve ya deveci (ya deve üstündeki hacı)
**necarî** *m* marangozluk, dülgerlik
**necax** *m* nacak
**necazîb** *rd* cazibesiz
**necedewî** *rd* nasırsız
**necef** *jeo/m* Necef taşı
**neceldkirî** *rd* ciltsiz, ciltlenmemiş olan
**necerbez** *rd* beceriksiz
**necerbezî** *m* beceriksizlik
**necergebez** *rd* beceriksiz, maharetsiz
**necergebezî** *m* beceriksizlik, maharetsizlik
**necidî** *rd* ciddi olmayan, gayrî ciddî
**necihêwaz** *rd* **1.** farksız **2.** *mec* renksiz, belli bir niteliği olmayan
**necihêwazî** *m* **1.** farksızlık **2.** *mec* renksizlik, belli bir niteliği olmama durum
**necirandin** *m* yontma (taş veya tahta oymak)

**necirandin** *l/gh* yontmak (taş veya tahta oymak)
**necirandî** *rd* yontulu
**necirîn** *m* yontulma
**necirîn** *l/ngh* yontulmak
**necis** *rd* pis (kendisinde kir veya pislik olmamasına rağmen bazı sebeplerden dolayı iğrenilen) * **ew penêr necis e, mişk kenarên wê xwarine** o peynir pistir, kenarlarını fare yemiş
**necisandin** *m* pisletme (iğrenilecek duruma getirme)
**necisandin** *l/gh* pisletmek(iğrenilecek duruma getirmek)
**necisbûn** *m* pislenme (iğrenilecek duruma gelme)
**necis bûn** *l/ngh* pislenmek (iğrenilecek duruma gelmek)
**necisbûyîn** *m* pisleniş
**neciskirin** *m* pisleme
**necis kirin** *l/gh* pislemek (iğrenilecek duruma getirmek)
**neciyawaz** *rd* **1.** farksız **2.** *mec* renksiz, belli bir niteliği olmayan
**neciyawazî** *m* **1.** farksızlık **2.** *mec* renksizlik, belli bir niteliği olmama durum
**necizûbendkirî** *rd* ciltsiz, ciltlenmemiş olan
**necîb** *rd* **1.** necip, soylu **2.** necip, temiz (ahlâkça lekesiz, nezih)
**necîlakîrî** *rd* cilâsız, cilâ sürülmemiş olan
**necîltkirî** *rd* ciltsiz, ciltlenmemiş olan
**necotkirî** *rd* sürülmemiş (toprak)
**necûs** *rd* pis (kendisinde kir veya pislik olmamasına rağmen bazı sebeplerden dolayı iğrenilen)
**neçak** *rd* kötü (iyi karşıtı)
**neçakî** *m* kötülük
**neçandbar** *rd* ekilmez (toprak)
**neçandî** *rd* ekili olmayan * **axa neçandî** ekili olmayan toprak
**neçar** *nd/rd* **1.** naçar, çaresiz, bîçare **2.** âciz, güçsüz * **kalekî neçar** âciz bir ihtiyar **3.** mecbur, çaresiz, naçar, ister istemez ~ **bûn** 1) naçar olmak 2) mecbur olmak ~ **kirin** mecbur etmek mecbur ~ **man** 1) naçar kalmak 2) mecbur kalmak ~**î (tiştekî) kirin** (birini) mecbur tutmak
**neçarane** *h* **1.** çaresizce **2.** âcizane
**neçar bûn** *m* **1.** naçar olma **2.** mecbur olma
**neçar bûn** *l/ngh* **1.** naçar olmak **2.** mecbur olmak
**neçarçovekirî** *rd* çerçevesiz (çerçeveye geçirilmemiş veya içine alınmamış olan)
**neçarekî** *rd* kaçınılmaz
**neçarge** *m* tuzak (yaban hayvanlarını yakalamaya yarayan araç veya düzen)
**neçarî (I)** *rd* mecburî
**neçarî (II)** *m* **1.** çaresizlik, bîçarelik **2.** mecburiyet
**neçarîtî** *m* mecburiyet
**neçarkirin** *m* mecbur etme
**neçar kirin** *l/gh* mecbur etmek
**neçarman** *m* mecbur kalma
**neçar man** *l/ngh* mecbur kalmak
**neçemandî** *rz/rd* **1.** bükümsüz **2.** çekimsiz
**neçerçîvekirî** *rd* çerçevesiz (çerçeveye geçirilmemiş veya içine alınmamış olan)
**neçevandî** *rz/rd* **1.** bükümsüz **2.** çekimsiz
**neçevandîbûn** *m* çekimsizlik
**neçevandîtî** *m* çekimsizlik
**neçê** *rd* **1.** kötü (iyi karşıtı) * **qelemeke neçê** kötü bir kalem **2.** kötü (hoşa gitmeyen) **3.** kötü, fena (davranışları toplumun ahlâk anlayışına uymayan) **4.** değersiz, naçiz
**neçêbûn** *m* bozulma (iyi ve değerli niteliğini yitirme)
**neçê bûn** *l/ngh* bozulmak (iyi ve değerli niteliğini yitirmek)
**neçêkirî** *rd* **1.** yapay olmayan **2.** yapılmamış, tamamlanmamış olan (yapılıp tamamlanmamış olan) * **xaniyê neçêkirî** tamamlanmamış ev
**neçêtî** *m* kötülük, fenalık ~ **kirin** fenalık etmek
**neçêyane** *h* naçizane
**neçêyî** *m* kötülük
**neçivr** *rd* tavsız
**neçopeço** *rd* **1.** özensiz, kaba saba **2.** kaba saba taş
**neçûn ber hev** *l/bw* **1.** kıyaslanmamak **2.** birbirinin dengi olmamak, birbirine yakışmamak, birbirine göre olmamak
**neçûn serî** *l/ngh* güdükleşmek, sonuç vermemiş olmak
**nedabeşbar** *rd* bölünmez
**nedabeşbarî** *m* bölünmezlik
**nedabeşkar** *bnr* nebabaşbar
**nedadayî** *rd* kilitsiz (kilitlenmemiş)
**nedadî** *m* adaletsizlik
**nedagirtî** *rd* boş, doldurulmamış olan
**nedan** *m* vermeme ~ **û nestendin** anîden ölmek
**nedan gotin** *l/ngh* ketum olmak
**nedan kirin** *l/gh* **1.** yaptırmamak **2.** yasaklamak
**nedar** *rd* yoksul, fakir
**nedarî** m yoksulluk, fakirlik
**nedawetkirî** *rd* davetsiz (davet edilmemiş olan)
**nedawî** *rd* **1.** kavruk (kurumaya yüz tutmuş) * kincên nedawî kavruk elbiseler **2.** *m* nem (hafif ıslaklık)
**nedawîbûn** *m* **1.** tepserme **2.** soruşma (çamaşır kurumaya başlamak
**nedawî bûn** *l/ngh* **1.** tepsermek **2.** soruşmak (çamaşır kurumaya başlamak
**nedawîbûyîn** *m* **1.** tepserme **2.** soruşma (çamaşır kurumaya başlamak

**nedawîtî** *m* kavrukluk
**nedaxwazbar** *rd* rağbetsiz
**nedaxwazbarî** *m* rağbetsizlik, istenilmeme
**nedegel** *rd* basiretsiz
**nedegelî** *m* basiretsizlik
**nedelînbar** *rd* 1. geçirimsiz 2. su geçirmez
**nedelînbarî** *m* geçirimsizlik
**nedeqandî** *rd* aşısız (bitki)
**nedeqdeqkî** *rd* noktasız, beneksiz
**neder** *bnr* nezer
**nederbasbar** *rd* geçersiz
**nederbasbarbûn** *m* geçersizleşme
**nederbasbar bûn** *l/ngh* geçersizleşmek
**nederbasbarî** *m* geçersizlik
**nederbasî** *rz/rd* geçişsiz * **lêkera nederbasî** geçişsiz fiil
**nederdbihêr** *rd* geçimsiz * **miroveki nederdbihêr e** geçimsiz bir insan ~ bûn geçimsiz olmak
**nederdbihêrbûn** *m* geçimsizleşme
**nederdbihêr bûn** *l/ngh* geçimsizleşmek
**nederdbihêrî** *m* geçimsizlik
**nederderkî** *rd* dalgasız (renk)
**nedestbar** *rd* dokunulmaz
**nedestbarî** *m* dokunulmazlık
**nedestbelav** *rd* tutumlu
**nedestbelavî** *m* tutumluluk
**nedestbikar** *rd* beceriksiz
**nedestbikarî** *m* beceriksizlik
**nedestbikêr** *rd* beceriksiz, maharetsiz
**nedestbikêrî** *m* beceriksizlik, maharetsizlik
**nedestdayî** *rd* elverişsiz
**nedesthilat** *rd* iktidarsız (iktidar olma gücü olmayan)
**nedestûrgirtî** *rd* izinsiz
**nedestûrstendî** *rd* izinsiz
**nedestûryar** *rd* izinsiz
**nedeximandî** *rd* damgasız
**nedeyndar** *rd* borçsuz, borcu olmayan kimse
**nedeyndarî** *m* borçsuzluk
**nedeyndarîtî** *m* borçsuzluk
**nedijwar** *rd* çekişmesiz, meşakatsız
**nedilbicih** *rd* isteksiz, gönülsüz (razı olmayan)
**nedilgeş** *rd* neşesiz
**nedilkêş** *rd* cazibesiz
**nedilniwaz** *rd* cazibesiz
**nedilsoz** *rd* 1. sadakatsiz 2. vefasız, hakikatsız
**nedilsozî** *m* 1. sadakatsizlik 2. vefasızlık, hakikatsızlık
**nedilşa** *bnr* nedilşad
**nedilşad** *rd* 1. mutsuz 2. neşesiz
**nedilşadbûn** *m* mutsuzlaşma
**nedilşad bûn** *l/ngh* mutsuzlaşmak
**nedilşadî** *m* mutsuzluk
**nedilşayî** *m* 1. mutsuzluk 2. neşesizlik
**nedilşewat** *rd* duygusuz
**nedilxweş** *rd* 1. hoşnutsuz 2. neşesiz
**nedilxweşî** *m* 1. hoşnutsuzluk 2. neşesizlik ~**ya xwe nîşan dan** hoşnutsuzluk getirmek

**nedir (I)** *bnr* nezir
**nedir (II)** *m* adak
**nedirûtî** *rd* dikişsiz, dikilmemiş
**nediwê** *rd* istenmeyen kimse
**nediyar** *rd* 1. belirsiz 2. meçhul, belirsiz, bilinmeyen 3. gizli (niteliği anlaşılmayan, bilinmeyen) * **hêzên nediyar** gizli kuvvetler 4. *wj* belirsiz, ipham 5. ortada (yarışmalarda)
**nediyarî** *m* 1. belirsizlik 2. meçhulluk, belirsizlik 3. *wj* belirsizlik, iphamlık
**nediyarkirî** *rd* belirtisiz, belgisiz
**nediyarkirîtî** *m* belgisizlik
**nedîbar** *rd* görülmez, görünmeyen
**nedîm** *rd* yakışıklı
**nedîtbar** *fel/rd* soyut
**nedîtbarî** *fel/m* soyutluk
**nedîtî (I)** *rd* nadide
**nedîtî (II)** *rd/h* 1. görmemiş 3. görülmeden 2. görülmedik, görülmemiş, garaip ~ **gotin heft û nîv e** kesip atmak, kestirip atmak ~ **jê re hatin** olmuş (veya pişmiş) armut gibi eline düşmek ~ **heft û nîv** kesip atmak, kestirip atmak ~ **tu çima dibêjî heft û nîv** abacı kebeci ara yerde sen neci? ~**o dîr** oğlu olmuş kalkıp çükünü kesmiş
**nedîweder** *rd* saydamsız
**nedîwederî** *m* saydamsızlık
**nedurist** *rd* 1. dürüst olmayan 2. bozuk (cihaz için)
**nedurû** *rd* riyasız
**nedûrendîş** *rd* 1. basiretsiz 2. sağgörüsüz
**nedûrendîşî** *m* 1. basiretsizlik 2. sağgörüsüzlük
**neecibandin** *m* 1. beğenmeme 2. beğenmezlik
**neecibandin** *l/gh* 1. beğenmemek 2. beğenmemek (küçümsemek, hor görmek) * **kûsî ji qalikê ku jê derketiye neecibandiye** civciv yumurtadan çıkmış kabuğunu beğenmemiş
**neecibandî** *rd* beğenilmemiş olan
**needilîn** *m* iflah olmama
**needilîn** *l/ngh* iflah olmamak
**neefkirî** *rd* affedilmemiş olan
**neehîl** *rd* yetersiz
**neehîlbûn** *m* yetersizlik
**neemeliyatkirî** *rd* ameliyatsız, ameliyat olmamış olan
**neendaze** *rd* 1. ölçüsüz 2. *mec* tartısız, ölçüsüz
**neesehîtî** *m* kesinsizlik
**neewledar** *rd* güvensiz
**neewledarî** *m* güvensizlik
**neexlaqî** *rd* gayri ahlâkî
**neeyan** *rd* belirsiz
**neeyarî** *m* ayarsızlık
**neeyarkirî** *rd* ayarsız (saat, makine vs. için)
**nef** *m* yarar, fayda * **nefa wî ji malbata wî re tune ye** ailesine faydası yok
**nefam** *rd* 1. anlayışsız 2. bilinçsiz
**nefama** *rd* 1. anlayışsız 2. bilinçsiz (kendi etkinliğini eleştirmeli bir biçimde sezmeyen)

**nefamatî** *m* **1.** anlayışsızlık **2.** bilinçsizliklik
**nefaqe** *m* nafaka, geçimlik
**nefehma** *rd* **1.** anlayışsız, düşüncesiz, izansız **2.** ferasetsiz **3.** bilinçsiz
**nefehmane** *h* anlayışsızca, düşüncesizce, izansızca
**nefehmatî** *m* **1.** anlayışsızlık, düşüncesizlik, izansızlık **2.** ferasetsizlik **3.** bilinçsizlik
**nefehmbar** *rd* anlaşılmaz
**nefehmbarî** *m* anlaşılmazlık
**nefehmber** *rd* anlayışsız, düşüncesiz, izansız
**nefehmberî** *m* anlayışsızlık, düşüncesizlik, izansızlık
**nefehmdar** *rd* anlayışsız, düşüncesiz
**nefehmdarane** *h* anlayışsızca, düşüncesizce
**nefehmdarî** *m* anlayışsızlık, düşüncesizlik
**nefel** *zo/m* yonca (Trifolium)
**nefela derewîn** *bot/nd* tirfil
**nefela sêpelik** *bnr* nefela sêpelk
**nefela sêpelk** *bot/nd* üçgül, tirfil (Trifolium)
**nefeqe** *m* **1.** nafaka (geçimlik) **2.** *hiq* nafaka **3.** *mec* zahire ~ **dan (yekî)** nafakaya bağlamak
**nefer** *nd* nefer, er
**neferma** *rd* sivil (asker sınıfından olmayan kimse)
**nefes** *m* **1.** nefes, soluk **2.** nefes (sigara, pipo içilirken içe çekilen duman) * **min xwest ku ez nefesek li cixareyê bixim** sigaradan bir nefes almak istedim ~ **dan** soluk vermek ~ **dan û stendin** nefes almak, soluk alıp vermek ~ **girtin** nefes almak, soluk almak ~ **lê çikîn** nefesi kesilmek ~ **çikandin** *mec* sıkıştırmak ~ **lê xistin** nefes çekmek ~ **stendin** soluk almak ~**a (yekî) çikîn 1)** nefesi kesilmek, tıkanmak **2)** sıkılmak, bunalmak ~**a (yekî) di qûna (yekî) de derketin** kıçından solumak ~**a paşîn** son nefes ~**a paşîn dan** son nefesini vermek ~**a (yekî) sekinîn** nefesi durmak
**nefesçikên** *rd* nefes kesici
**nefesçikiyayî** *rd* nefesi kesilmiş, soluk soluğa kalmış olan
**nefesçikîn** *rd* nefes kesen
**nefesdan** *m* soluk verme, zefır
**nefesdan** *l/gh* soluk vermek
**nefesdar** *rd* nefesli
**nefesgiran** *rd* astımlı
**nefesgiranî** *bj/m* astım
**nefesilandin** *m* çatal görme (bir şeyi net görmeme)
**nefesilandin** *l/gh* çatal görmek (bir şeyi net görmemek)
**nefesîh** *rd* anlaşılmaz, gayri vazıh ~ **xeber dan** üstü kapalı konuşmak, bilmece gibi konuşmak
**nefesîhî** *m* **1.** anlaşılmazlık **2.** *wj* kapalılık
**nefetlonekî** *rd* dolaşıksız (yol)
**neêkser** *rd* dolaylı, indirekt
**nefr** *rd* korkak
**nefilandin** *m* olgunlaşmadan ağacın meyvelerinin düşürme
**nefilandin** *l/gh* olgunlaşmadan ağacın meyvelerinin düşürmek
**nefiqandin** *m* şişirme
**nefiqandin** *l/gh* şişirmek
**nefiqîn** *m* şişme
**nefiqîn** *l/ngh* şişmek
**nefiroşbar** *rd* satılmaz
**nefiy** *man/m* yadsıma, nefiy
**nefî** *m* **1.** nefiy, sürgün (sürgün etme) * **nefî ji bo min bûbû tiştekî wekî mirinê** sürgün benim için ölüm gibi bir şey olmuştu **2.** sürgün (bir kimsenin sürüldüğü yer) **(yek)** ~ **cihekî kirin** (bir yerde) ikamete mamur edilmek
**nefîbûn** *m* sürgün olma
**nefî bûn** *l/gh* sürgün olmak
**nefîbûyî** *rd* sürgün olmuş olan
**nefîbûyîn** *m* sürgün oluş
**nefîkirin** *m* nefyetme, sürgün etme
**nefî kirin** *l/gh* nefyetmek, sürgün etmek
**nefîkirî** *rd* sürgün edilmiş olan
**nefîr** *m* **1.** nefir (boynuzdan yapılan bir tür boru) **2.** *mzk* boru borazan (üfleyerek çalınan perdesiz çalgı)
**nefîram** *m* **1.** milis, savaşa katılan halk gücü **2.** seferberlik
**nefîzek** *rz/rd* **1.** ötümsüz **2.** çalımsız
**nefîzekî** *rz/m* ötümsüzlük
**nefret** *m* nefret * **nefreta min jê re pir e** ona nefretim büyük ~ **jê girtin** nefret uyandırmak ~ **kirin** nefret etmek
**nefretane** *h* nefretçe
**nefretkirin** *m* nefret etme, iğrenme
**nefret kirin** *l/gh* nefret etmek, iğrenmek
**nefrîn** *m* **1.** ilenç **2.** lanet okuma **3.** sövüp sayma ~ **kirin** lanet okumak
**nefrît** *bj/m* nefrit
**nefs** *m* **1.** nefis (öz varlık) * **ji bo ku nefsa canê xwe xelas bike ew kuştine** kendi nefsini kurtarmak için onları öldürmüş **2.** nefis (insanların yeme içme gibi ihtiyaçlarının tümü) ~**a xwe kor kirin** nefsini köreltmek **3.** *mec* boğaz (yiyeceği, içeceği sağlanan kimse) * **pênc nefs li mala me hene** bizim evde beş boğaz var **4.** *mec* boğaz (yeme içme) * **hevalê min yekî ku miriyê nefsa xwe ye** arkadaşım boğazına düşkün biridir **5.** kişi, nüfus, nefes (canlı varlık) * **li malê çar nefsên din jî hene** evde dört nefes daha var * em pênc nesf li virê hene burda kişi varız **6.** kibir, büyüklenme * **çi nefsek li serê ye** ne kadar da kibir sahibi **7.** tıpkısı * **ew bi nefs e** o aynı tıpkısı ~ **hemû kes lê lîbas ne hemû kes** yeme içme ihtiyacı herkes için geçerlidir, ayrım yapmamak lazım ~ **pê girtin** aç gözlülüğü tutmak ~**a canê (yekî) kubar bûn** (biri) çok nazik olmak ~**a Fîrewnî** bü-

yük kibır ~a (yekî) jê re serdest bûn (biri) kendi nefsine hakim olmamak ~a (yekî) kişandin (birinin) ahı tutmat ~a (yekî) mezin bûn kurumlu olmak ~a (yekî) pê girtin aç gözlülüğü tutmak ~a (yekî) pê nesekinîn nefsine hakim olmamak ~a xwe bi xwe ragirtin nefsine hakim olmak ~ xwe kor kirin nefsini köreltmek ~a xwe mezin kirin böbürlenmek ~a xwe şikandin nefsini köreltmek
**nefsaniyet** *m* nefsaniyet
**nefsanî** *rd* nefsanî
**nefsbiçûk** *rd/nd* **1.** alçak gönüllü, mütevazi **2.** kibirsiz, kurumsuz (kurumlu olmayan kimse)
**nefsbiçûkî** *m* **1.** alçak gönüllülük **2.** kibirsizlik
**nefsbilind** *rd/nt* kibirli
**nefsbilindî** *m* kibirlilik ~ **kirin** kibirlik yapmak
**nefsek** *rd* aç gözlü, gözü aç, nefsine düşkün, şikemperver
**nefsekî** *m* aç gözlülük, nefsine düşkünlük, şikemperverlik
**nefsektî** *m* aç gözlülük, nefsine düşkünlük, şikemperverlik
**nefsiyat** *m* nefsiyat, psikoloji
**nefsî** *nd/nt* evlatlık, üvey evlat
**nefsmezin** *rd/nt* kibirli, kuruntulu, kurumlu
**nefsmezinatî** *m* kibirlilik, kuruntululuk ~ **kirin** (bir şey yapmayı) nefsine yedirmemek
**nefsmezinî** *m* kibirlilik, kuruntululuk ~ **kirin** kibirlik yapmak
**nefsnexweş** *rd* hamile
**nefsnexweşbûn** *m* bebek bekleme
**nefsnexweş bûn** *l/ngh* bebek beklemek
**nefso** *bnr* nefsok
**nefsok** *rd* aç gözlü, gözü aç, nefsine düşkün, şikemperver
**nefsokî** *m* aç gözlülük, nefsine düşkünlük, şikemperverlik
**nefsqantir** *rd/argo* nefsine çok düşkün
**nefstenik** *rd* **1.** nefsine düşkün **2.** duygulu, inci duygulu ~ **bûn 1)** nefsine hakim olmamak **2)** duygulanmak
**nefstenikî** *m* **1.** nefsine düşkünlük **2.** duygululuk, ince duygululuk
**neft** *m* **1.** neft **2.** neft (neft yağı) **3.** petrol
**neftfiroş** *nd/nt* petrolcü, petrol satan
**neftger** *nd/nt* petrolcü (imal eden)
**neftî** *rd* neftî
**neftî bûn** *l/ngh* neftîleşmek
**negatîf** *rd* **1.** negatif, olumsuz **2.** *fel* negatif, olumsuz (bir şeyi inkâr eden, ret özeliği taşıyan) **3.** *mat/fiz* negatif, eksi (sıfırdan küçük, önünde eksi işareti bulunan sayı) **4.** negatîf (negatif film)
**negatîfî** *m* negatiflik
**negbet** *rd* kirli, pis
**negebsoyî** *rd* sıkıntısız
**negehban** *nd/nt* nöbetçi
**negehbanî** *m* nöbetçilik
**negengaz** *rd* **1.** imkânsız, olanaksız **2.** olamaz
**negengazbûn** *m* imkânsızlaşma, olanaksızlaşma
**negengaz bûn** *l/ngh* imkânsızlaşmak, olanaksızlaşmak
**negengazbûyîn** *m* imkânsızlaşma, olanaksızlaşma
**negengazî** *m* imkansızlık, olanaksızlık
**neger** *rz/rd* geçişsiz
**negerandî** *rz/rd* geçişsiz
**negeranî** *rz/rd* geçişsiz
**negerdîşî** *rd* törelsiz
**negerek** *rd* gereksiz, lüzumsuz
**negerekî** *m* gereksizlik, lüzumsuzluk
**negerguhêz** *rz/rd* geçişsiz * **lêkera negerguhêz** geçişsiz fiil
**negewz** *rd* keyifsiz, neşesiz
**negewzbûn** *m* **1.** keyifsiz olma **2.** keyifsizli, neşesizlik
**negihêj** *rd* ulaşılmaz
**negihîştî** *rd* ham, olmamış, olgunlaşmamış (meyveler için)
**negijikî** *rd* dolaşıksız
**negiranbiha** *rd* değersiz, kıymetsiz
**negiranbihatî** *m* değersizlik, kıymetsizlik
**negirîft** *rd* çetrefillisiz, dolaşıksız
**negirîng** *rd* önemsiz, ehemmiyetsiz
**negirîngbûn** *m* önemsizlik
**negirtin** *m* almamazlık
**negirtî (I)** *rd* kapalı olmayan, örtüsüz (kapı, pencere için)
**negirtî (II)** *rd* tutuksuz
**negivêrî** *rd* hazımsız (yediklerini kolay sindiremeyen)
**negivêrîtî** *m* hazımsızlık
**negiyanewer** *rd* cansız
**negonandî** *rd* boyasız (boya sürülmemiş, boyalanmamış olan)
**negotî** *rd* söylenmemiş, meskût
**negrêdayî** *rd* bağlantısız
**negubrekirî** *rd* gübresiz, gübrelenmemiş olan
**neguhar** *rd* sabit, değişmeyen
**neguher** *rd* **1.** değişmez, sabit (değişmeyen) **2.** *mat/m* sabite
**neguherbar** *rd* değişmez, sabit (değişmeyen)
**neguhêr** *rd* değişmez, değişmeyen
**neguhêrbar** *rd* değişmez
**neguhêz** *rd* değişmez, sabit
**neguhêzbar** *nd/rd* **1.** taşınmaz, gayrî menkul * **malên neguhêzbar** taşınmaz mallar **2.** değişmez, sabit (değişmeyen)
**neguncan** *rd* uygunsuz, isabetsiz
**neguncandî** *rd* **1.** uyumsuz **2.** uygun olmayan
**neguncandîbûn** *m* uyumsuzluk
**neguncanî** *m* **1.** uygunsuzluk **2.** uymazlık
**negunehbar** *rd* günahsız
**negunehbarî** *m* günahsızlık

**negurivandî** *rd* uyumsuz
**negurivandîbûn** *m* uyumsuzluk
**negurûzekî** *rd* pürüzsüz, duru (ten)
**neguvar** *rd* **1.** tatsız, yutulmaz **2.** sindirimi zor olan
**neh** *n* **1.** dokuz (9, IX) **2.** *rd* dokuz (sekizden bir artık) ~ **deh** beş on * **di civînê de em tevî hev neh deh kes hebûn** toplantıda beş on kişi vardı hataları daha önceden de olana yeniside hatırlatmak ~ **li ser dahan** ~**ê (yekî) danîn ser dehên (ên din)** mimlemek ~**ê te jî li ser dehan be** senin de alacağın olsun
**nehal (I)** *bnr* newal
**nehal (II)** *m* nalın
**nehan** *m* tenezül
**nehane** *m* dokuzluk
**nehanî** *rd* gizli
**nehar** *h* gündüzleyin
**neharî** *rd* gündüzlü (okula gündüz giden, yatılı olmayan öğrenci)
**nehawend** *mzk/m* nihavent
**nehberîk** *m* dokuz cebi olan ve duvar süsü olarak ta kullanılan bir süs eşyası
**nehberk** *m* dokurcun, tokurcun, dokuz taş
**nehejekî** *rd* sarsıntısız
**nehek** *nd* kurban bayramına dokuz gün kala tutulan dokuz günlük oruç
**nehelal** *rd* **1.** haram **2.** üvey * **apê min ê nehelal** üvey amcam
**nehelistî** *rd* çürüksüz
**nehelketî** *rd* başarısız
**nehelketîbûn** *m* **1.** başarısız olma **2.** başarısızlık
**nehelketî bûn** *l/ngh* başarısız olmak
**nehelketîbûyî** *rd* başarısız olmuş, başarmamış olan
**nehelketîbûyîn** *rd* başarısız oluş
**nehem** *rd* dokuzuncu
**nehemcisn** *rd* hemcins olmayan
**nehemcure** *rd* heterojen, türdeş olmayan
**nehemd** *h* istemeden
**nehemîn** *rd* dokuzuncu
**neheneh** *rd* dokuzar
**neheng (I)** *n* **1.** kahraman **2.** dev (korkunç, çok iri ve olağanüstü güçlü masal yaratığı)
**neheng (II)** *zo/m* balina (Balaena mistycetus)
**neheq** *rd* haksız (davası, iddiası, davranışı, düşüncesi doğru ve yerinde olmayan) * **di vî tiştî de hevalê we neheq e** bu işte arkadaşınız haksız ~ **dîtin** haksız bulmak
**neheqî** *m* haksızlık * **ji ber vê neheqiyê bû xwê û kete agir** bu haksızlığa karşı köpürdü ~ **kirin** haksızlık etmek
**neheqîkirin** *m* haksızlık yapma
**neheqî kirin** *l/gh* haksızlık yapmak
**neheqîtî** *m* haksızlık ~ **kirin** haksızlık etmek
**neheram** *rd* haram olmayan
**nehes** *rd* haşarı, şımarık
**nehesabkirî** *rd* hesapsız, hesap edilmemiş olan
**nehesabnekirane** *h* hesapsızca, plansızca
**nehesas** *rd* duyarsız
**nehesasbûn** *m* duyarsızlaşma
**nehesas bûn** *l/ngh* duyarsızlaşmak
**nehesasbûyîn** *rd* duyarsızlaşma
**nehesasî** *m* duyarsızlık
**nehesaskirin** *m* duyarsızlaştırma
**nehesas kirin** *l/gh* duyarsızlaştırmak
**nehesibandin** *m* **1.** hesap etmeme **2.** hesaba katmama
**nehesibandin** *l/gh* **1.** hesap etmemek **2.** hesaba katmamak
**nehesî** *m* haşarılık
**nehesok** *rd* haşarı, şımarık
**nehesokî** *rd/h* haşarıca
**nehesokîbûn** *m* haşarılaşma
**nehesokî bûn** *l/ngh* haşarılaşmak
**nehestewer** *rd* duyarsız
**nehestewerbûn** *m* duyarsızlaşma
**nehestewer bûn** *l/ngh* duyarsızlaşmak
**nehestewerbûyîn** *rd* duyarsızlaşma
**nehestewerî** *m* duyarsızlık
**nehestewerkirin** *m* duyarsızlaştırma
**nehestewer kirin** *l/gh* duyarsızlaştırmak
**nehestyar** *rd* duyarsız
**nehestyarbûn** *m* duyarsızlaşma
**nehestyar bûn** *l/ngh* duyarsızlaşmak
**nehestyarbûyîn** *rd* duyarsızlaşma
**nehestyarî** *m* duyarsızlık
**nehestyarkirin** *m* duyarsızlaştırma
**nehestyar kirin** *l/gh* duyarsızlaştırmak
**neheş** *rd* baygın, şuursuz
**nehevbîn** *mat/rd* bakışımsız
**nehevbînî** *mat/m* bakışımsızlık
**nehevdemî** *rd* asenkron
**nehevdirûv** *rz/m* benzeşmez
**nehevdirûvî** *rz/m* benzeşmezlik
**nehevedemî** *rd* eşlemesiz
**nehevkirî** *rd* simetrisiz
**nehevnêr** *mat/rd* bakışımsız
**nehevnêrî** *mat/m* bakışımsızlık
**nehevnêrîtî** *mat/m* bakışımsızlık
**nehevşibîn** *rz/rd* benzeşmez
**nehevşibînî** *rz/m* benzeşmezlik
**nehevta** *rd* **1.** denk olmayan **2.** *mat* bakışımsız asimetrik
**nehevtayî** *mat/m* bakışımsızlık, asimetri
**nehewce** *rd* gereksiz, lüzumsuz ~ **ye** gerek yok
**nehewcetî** *m* gereksizlik, lüzumsuzluk
**nehez** *rd* sevimsiz
**nehezî** *m* sevimsizlik
**nehêja** *rd* **1.** değersiz, kıymetsiz **2.** değersiz, naçiz **3.** kalitesiz
**nehêjabûn** *m* **1.** değersizlik **2.** kalitesizlik
**nehêjatî** *m* **1.** değersizlik, kıymetsizlik **2.** kalitesizlik
**nehêl** *m* engel
**nehêmin** *rd* dingin olmayan, istikrarsız
**nehêmî** *rd* nemsiz, rutubetsiz

**nehên** *rd* gizli, giz **2.** *fel/m* gizem
**nehêniyî** *rd* gizemsel
**nehênî** *m* **1.** giz, gizem, sır **2.** *rd* gizemli **3.** *rd* gizli, saklı **4.** *rd* illegal, gizli * **rêxistina nehênî** illegal örgüt
**nehênîdar** *rd* gizemli
**nehênîtî** *m* gizellilik, muamalık
**nehênkirin** *m* saklama
**nehên kirin** *l/gh* saklamak
**nehêrsbûyî** *rd* öfkesiz, öfkelenmemiş (kimse)
**nehêrsok** *rd* hırssız, sinirsiz
**nehêrsokbûn** *m* sinirsizlik
**nehêrsokî** *rd* hırssızca, sinirsizce
**nehêrsoyî** *rd* hırssız, sinirsiz
**nehêsan** *rd* rahatsız (sıkıntı, tedirginlik veren)
**nehêsankirî** *rd* kılağısız
**nehêvijî** *rd* eğitimsiz
**nehêvijîbûn** *m* eğitimsizlik
**nehêvotî** *rd* eğitimsiz
**nehêvotîbûn** *m* eğitimsizlik
**nehêvotîtî** *m* eğitimsizlik
**nehgoşe** *mat/m* dokuzgen
**nehf** *m* fayda, yarar
**nehfdar** *rd* faydalı, yararlı
**nehfdarbûn** *m* faydalanma
**nehfdar bûn** *l/ngh* faydalanmak
**nehgon** *bnr* newgon
**nehifandin** *m* faydalandırma, yararlandırma
**nehifandin** *l/gh* faydalandırmak, yararlandırmak
**nehifîn** *m* faydalanma, yararlanma
**nehifîn** *l/ngh* faydalanmak, yararlanmak
**nehiftin** *m* saklama
**nehiftin** *l/gh* saklamak
**nehik** *n* dokuz **~ê ser dehikan** ticarette fahiş kazanc
**nehincirandî** *rd* zedesiz
**nehindir** *rd/nt* geveze (çenesi düşük)
**nehindirî** *m* gevezelik (çenesi düşüklüğü)
**nehing** *bnr* neheng
**nehiş** *rd* baygın, kendinden geçmiş olan ~ **ketin** 1) bayılmak, kendinden geçmek **2)** şuursuz yatmak, şuurunu yitirmek
**nehişî** *rd* **1.** baygın **2.** şuurunu yitirmiş ~ **1)** baygınlık geçirmek **2)** şuursuz yatmak, şuurunu yitirmek
**nehişketin** *m* baygınlık geçirme
**nehiş ketin** *l/gh* baygınlık geçirmek
**nehiştin** *m* **1.** bırakmama **2.** alıkoyma
**nehiştin** *l/gh* **1.** bırakmamak **2.** alıkoymak * **apê min bêatlebûn behsa Stenbolê dikir, nedihişt ku bavê min nanê xwe bixwe** amcam mütemadiyen İstanbul'dan bahsederek babamı yemeğinden alıkoyuyordu ~ **bêhna (tiştekî) herin (yekî)** koklatmamak (hiç vermemek) ~ **devê (yekî) pê bûn** koklatmamak (hiç vermemek) ~ **gotin bi ber gotinê xistin** (birini) lâfa boğmak, lâkırdıya boğmak ~ **xeta hatin serê** üstüne toz kondurmamak

**nehiştî** *rd* dikkatsiz
**nehiştîbûn** *m* dikkatsizlik
**nehişyar** *rd* aymaz
**nehişyarî** *m* aymazlık
**nehiye** *m* **1.** nahiye **2.** *erd/m* nahiye, kuşak (yer yüzünün beş bölümünden her biri)
**nehiyeya germê** *erd* sıcak kuşak
**nehiz** *rd* sevimsiz
**nehizî** *m* sevimsizlik
**nehîb** *rd* **1.** çapulcu, yağmacı **2.** *m* korku, ürküntü
**nehîdar** *rd* kullanışlı * **xaniyekî nehîdar** kullanışlı bir ev
**nehîledar** *rd* **1.** hillesiz **2.** çürüksüz
**nehîlet** *nd/nt* hasım
**nehînbûyî** *rd* alışkın olmayan
**nehîndir** *rd* (**r** kalın okunur) sır saklamayan
**nehît (I)** *rd* nemsiz (toprak için)
**nehît (II)** *n* **1.** iri taş **2.** yapılarda işlenmemiş iri taş
**nehîteyî** *rd* irice taş
**nehk (I)** *bot/m* **1.** nohut (Cicer arietinum) **2.** nohut (bu bitkinim yuvarlak tanesi)
**nehk (II)** *m* olta
**nehkevir** *n* dokurcun, dokuz taş oyunu
**nehkîn** *rd* nohutlu
**neh libî** *rd* dokuzlu (dokuz parçadan oluşan, içinde dokuz parça bulunan)
**nehmend** *rd* dokuzlu (üzerinde dokuz işareti bulunan iskambil kâğıdı vb. için)
**nehonandî** *rd* örgüsüz
**nehoneho** *rd* dokuzar
**nehotî** *rd* çok dayak yemiş olan
**nehp** *m* **1.** *argo* tırnak **2.** tırmık (tırnak beresi) **~ên (yekî) hatin** (an jî **kişîn)** tırnakları uzamak
**nehperoşk** *m/argo* tırnak pençe
**nehpik** *n* **1.** *argo* tırnak **2.** pençe, yırtıcı hayvan tırnağı
**nehpirandin** *m* tırnaklama, tırmalanmak
**nehpirandin** *l/gh* tırnaklamak, tırmalamak
**nehpirîn** *m* tırnaklanma, tırmalanma
**nehpirîn** *l/ngh* tırnaklanmak, tırmalanmak
**nehpkirin** *m* pençeleme, tırmalama
**nehp kirin** *l/gh* pençelemek, tırmalamak
**nehprûşk** *m/argo* tırnak pençe
**nehrevan** *nd/nt* tanık, şahit
**nehrevanî** *m* tanıklık, şahitlik
**nehs** *rd* **1.** haşarı, yaramaz, azgın, kuduruk * **ez dizaroktiya xwe de yekî pir nehs bûme** çocukluğumdan çok haşarı birisiymişim **2.** şımarık **3.** afacan, uçarı (ele avuca sığmaz) **4.** haylaz, hayta ~ **bûn 1)** yaramaz olmak **2)** şımarık olmak **3)** afacanlaşmak
**nehsbûn** *m* **1.** yaramazlaşma, kudurma **2.** şımarma, baylanma **3.** afacanlaşma, uçarılaşma
**nehs bûn** *l/ngh* **1.** yaramazlaşmak, kudurmak **2.** şımarmak, baylanmak **3.** afacanlaşmak,

uçarılaşmak 4) haylazlaşmak
**nehsbûyîn** *m* 1. yaramazlaşma, kuduruş 2. şımarış, baylanış 3. afacanlaşma, uçarılaşma
**nehsiyane** *h* 1. yaramazca 2. şımarıkça 3. afacanca, uçarıca 4. haylaz, hayta
**nehsî** *m* 1. haşarılık, yaramazlık, kudurukluk 2. şımarıklık 3. afacanlık, uçarılık 4. haylazlık, haytalık
**nehsî** *m* yaramazlık ~ **kirin** 1) yaramazlık yapmak 2) şımarıklık yapmak 3) uçarılık etmek 4) haylazlık etmek
**nehsîbûn** *m* 1. yaramazlaşma, kudurma 2. şımarma, baylanma 3. afacanlaşma, uçarılaşma
**nehsî bûn** *l/ngh* 1. yaramazlaşmak, kudurmak 2. şımarmak, baylanmak 3. afacanlaşmak, uçarılaşmak 4) haylazlaşmak
**nehskirin** *m* 1. haşarılaştırma 2. şımartma 3. uçarılaştırma
**nehs kirin** *l/gh* 1. haşarılaştırmak 2. şımartmak 3. uçarılaştırmak
**nehş** *m* teneşir
**nehşemê** *nd* geyikler kırkımında (hiçbir zaman olmayacak işler için söylenir)
**nehşî** *bnr* naşî
**nehşîtî** *bnr* naşîtî
**nehtik** *m* alın çatısı
**nehtor** *nd/nt* bekçi
**nehtorî** *m* bekçilik
**nehunerwer** *rd* beceriksiz, maharetsiz
**nehunerwerî** *m* beceriksizlik, maharetsizlik
**nehunkûf** *rd* denk olmayan
**newh** *m* nahiv, cümle bilgisi
**nehwêd** *n* doksan (90, XC)
**nehwiran** *m* mırıldanma, terennüm
**nehwirandin** *m* mırıldama, terennüm etme
**nehwirandin** *l/gh* mırıldamak, terennüm etmek
**nehwirîn** *m* mırıldanma, terennüm etme
**nehwirîn** *l/ngh* mırıldanmak, terennüm etmek
**nehyayî** *rd* olgun, pişkin kimse
**neilmî** *rd* bilim dışı ~ **bûn** bilim dışı olma
**neilmîbûn** *m* bilim dışı olma, bilimsizlik
**neînsan** *rd* insaniyetsiz
**neînsanî** *m* insaniyetsizlik
**neîradî** *rd* gayri iradî
**neîspatkirî** *rd* ispatsız, tanıtsız
**neîzingirtî** *rd* izinsiz
**neîzinstendî** *rd* izinsiz
**nejd** *bnr* nijd
**nejdar** *rd* sağlıklı
**nejdarî** *m* sağlık
**nejdevan** *bnr* nijdevan
**nejdî** *bnr* nijdî
**nejes** *rd* pinti
**nejesî** *m* pintilik
**nejê** *rd* tuhaf, anormal
**nejêhatî** *rd* 1. başarısız * **xwendekareke nejêhatî** başarısız bir öğrenci 2. beceriksiz 3. zayıf (bilgi yönünde yeterli olmayan * **mamosteyeke nejêhatî** zayıf bir öğretmen
**nejêhatîbûn** *m* 1. başarısızlık 2. beceriksizlik
**nejêyî** *m* tuhaflık, anormallik
**nejibîr** *rd* unutulmaz ~ **bûn** unutulmaz olmak
**nejibîrî** *m* unutulmazlık
**nejidil** *rd* 1. içtenliksiz, içtensiz, samimiyetsiz 2. yapmacık, yapay, sahte (içten olmayan) * **kena nejidil** sahte gülüş ~ **û can** içtenliksiz
**nejidilbûn** *rd* içtenliksizlik, içtensizlik, samimiyetsiz
**nejidilbûnî** *m* içtenliksizlik, içtensizlik, samimiyetsizlik
**nejidilî** *m* 1. içtenliksizlik, içtensizlik 2. *rd/h* yapmacıklı
**nejidilûcan** *rd* içtenliksiz, içtensiz, samimiyetsiz
**nejidilûcanî** *m* içtenliksizlik, içtensizlik
**nejidilûcanîtî** *m* samimiyetsizlik
**ne ji hemd** *h* elinde olmayarak
**ne ji hemd bûn** *l/bw* elinden olmamak
**nejihev** *rd* apayrı, farklı (aynı olmama)
**nejihevî** *m* apayrılık, farklılık
**nejin** *rd* çepel kadın
**nejirê** *rd* sapık
**ne ji xwedê re bûn** *l/bw* şiret, arsız olmak
**nejixwere** *rd* 1. arsız, şirret 2. yaramaz, şımarık
**nejixwere bûn** *l/ngh* yaramaz olmak, şımarık olmak
**nejixweretî** *m* 1. arsızlık, şirretlik 2. yaramazlık, şımarıklık
**nekafî** *rd* yetersiz, gayri kâfi
**nekafîbûn** *m* 1. yetersiz olma 2. yetersizlik
**nekafîbûnî** *m* yetersizlik
**nekafîtî** *m* yetersizlik
**nekamî (I)** *m* fesatlık, alehte konuşma
**nekamî (II)** *rd* ilkel, primitif
**nekamîran** *rd* bahtsız, mutsuz
**nekamîranî** *m* bahtsızlık, mutsuzluk
**nekar** *rd* elinden bir iş gelmeyen kimse
**nekara** *rd* erksiz
**nekaratî** *m* erksizlik
**nekarbidest** *rd* yetkisiz, salâhiyetsiz
**nekarbidestî** *m* yetkisizlik, salâhiyetsizlik
**nekartêker** *rd* etkisiz, nüfuzsuz
**nekederî** *rd* yarılmamış yara, darbe
**nekederî bûn** *l/ngh* kabız olmak, yediklerini dışarı çıkaramamak
**nekedîkirî** *rd* evcilleşmemiş olan
**nekemilandî** *rd* olgunlaşmamış
**nekemper** *rd* kiyaslanmaz
**nekes** *rd* 1. nekes, cimri 2. pinti 3. adi, bayağı, namert
**nekesane** *rd* gayrî şahsî
**nekesanebûn** *m* gayrî şahsîleşme, kişilik dişi olma
**nekesane bûn** *l/ngh* gayrî şahsîleşmek, kişilik dişi olmak
**nekesanekirin** *m* gayrî şahsîleştirme, kişilik dişi etme

**nekesane kirin** *l/gh* gayrî şahsîleştirmek, kişilik dişi etmek
**nekesanî** *rd* kişilik dışı
**nekesî bûn** *l/ngh* pintileşmek
**nekesî kirin** *l/gh* gayri şahsileştirmek, kişilik dişi etmek
**nekesî (I)** *rd* kişilik dışı
**nekesî (II)** *m* **1.** nekeslik, cimrilik **2.** pintilik **3.** adilik, bayağılık
**nekesîde** *rd* gayrî şahsî
**nekesîdeyî** *rd* gayrî şahsî
**nekesîdeyîkirin** *m* gayrî şahsîleştirme
**nekesîdeyî kirin** *l/gh* gayrî şahsîleştirmek
**nekesîkirin** *m* gayrî şahsîleştirme, kişilik dişi etme
**nekesîkirî** *rd* gayrî şahsîleştirilmiş, kişilik dişi edilmiş
**nekevnar** *rd* genç (bitki için gelişmesini tamamlamamış olan) * **ev dar hîna nekevnar e mebirin** bu ağaç daha genç, kesmeyin
**nekewîkirî** *rd* ütüsüz
**nekeyskirî** *rd* dağınık, düzensiz, tertipsiz (düzeni bozuk, karışık)
**nekêfkar** *rd* kaprissiz
**nekêfxweş** *rd* **1.** hoşnutsuz **2.** neşesiz
**nekêfxweşî** *m* **1.** hoşnutsuzluk **2.** neşesizlik **~ya xwe nîşan dan** hoşnutsuzluk getirmek
**nekêm** *rd* eksiksiz, tam, eksik olmayan
**nekêmî** *m* eksiksizlik, noksansızlık
**nekêr** *rd* **1.** beceriksiz **2.** aylak, çalışmayan **3.** yaramaz * **tiştekî nekêr nîn e** yaramaz bir durum yok
**nekêrî** *m* **1.** beceriksizlik **2.** aylaklık, çalışmama **3.** yaramazlık
**nekêrhatî** *rd* **1.** beceriksiz **2.** elverişsiz **3.** kullanışsız **4.** yaramaz, yararı olmayan şey
**nekêrhatîbûn** *m* **1.** beceriksizlik **2.** elverişsizlik **3.** kullanışsızlık
**nekêşandî** *rd* tartısız (tartılmamış olan)
**nekifş** *rd* **1.** belirsiz **2.** ortada (yarışmalarda)
**nekifşe** *rd* belirsiz
**nekifşkirî** *rz* belgisiz
**nekifşkirîtî** *m* belgisizlik
**nekilîtkirî** *rd* kilitsiz (kilitlenmemiş)
**nekilkirî** *rd* sürmesiz
**nekişandî** *rd* **1.** tartısız (tartılmamış olan) **2.** *rz* çekimsiz
**nekişandîbûn** *m* çekimsizlik
**nekişandîtî** *m* çekimsizlik
**nekişînok** *rd* alımsız, cazibesiz
**nekişînokî** *m* alımsızlık, cazibesizlik
**neks** *bj/m* bel (bir tür hastalık) ~ **hilanîn** hastalığı tedavi etmek ~ **bûn** hastalığa tutulmak
**neksan** *m* daldırma
**nekse** *m* darbe (vuruş, çarpış)
**nektar** *nd* nektar, bal özü
nekubar *rd* kibar olmayan
**nekulbekirî** *rd* çapasız (çapalanmamış yer)
**nekun** *rd* deliksiz
**nekunkunoşkî** *rd* gözeneksiz
**nekurdziman** *rd* dili Kürtçe olmayan
**nekurkirî** *rd* tıraşsız
**nekurtankirî** *rd* semersiz
**nekuşpene** *rd* kurumsuz, kasıntısız (kurumlu olmayan kimse)
**nelazim** *rd* gereksiz
**nelazimî** *m* gereksizlik
**nelbend** *n* nalbant
**nelbendî** *m* nalbantlık
**nelbendxane** *m* nalbanthane
**nelem** *erd/n* tepe
**nelerzok** *rz/m* titreşimsiz
**nelet** *m* lânet ~ **lê anîn** lânetlemek ~ **lê barandin** birine lânet okumak ~ **lê be!** nâlet olsun! ~ **lê bibare** şeytan görsün yüzünü ~ **lê hatin** lânetlenmek ~ **lê kirin** birine lânet okumak ~**ê şeytan** aksi şeytan ~**ê şeytan kete nava wan** aralarından kara kedi geçmek (veya aralarına kara kedi girmek)
**neletbar** *rd* naletli
**neletdar** *rd* naletli
**neleylî** *rd* yatısız
**nelê** *rd* **1.** geçersiz (oyunlarda) **2.** geçersiz, uygunsuz **3.** aykırı **4.** uymaz
**nelêbûn** *m* **1.** geçersizleşme **2.** uygunsuzlaşma
**nelê bûn** *l/ngh* **1.** geçersizleşmek **2.** uygunsuzlaşmak
**nelêkerî** *rd* imarsız, inşa edilmemiş olan
**nelêkirin** *m* geçersizleştirme, geçersiz sayma
**nelê kirin** *l/gh* geçersizleştirmek, geçersiz saymak
**nelêtî** *m* **1.** geçersizlik **2.** aykırılık **3.** uymazlık
**nelêyî** *bnr* nelêtî
**nelêzok** *rd* kaprissiz
**nelêkirin** *m* geçersizleştirme, geçersiz hale getirme
**nelê kirin** *l/gh* geçersizleştirmek, geçersiz hale getirmek
**ne li amadê xwe bûn** *l/bw* kendinde olmamak
**nelibar** *rd* **1.** uygunsuz **2.** uyuşmaz **3.** gerilimsiz, gergin olmayan
**nelibarbûn** *m* **1.** uygunsuzluk **2.** uyuşmazlık **3.** gerilimsizlik, gergin olmama
**nelibarî** **1.** uygunsuzluk **2.** uyuşmazlık
**neliber** *rd* örtüsüz (kapı, pencere için)
**nelicih** *rd* **1.** uygunsuz, yersiz **2.** yakışıksız
**nelicihî** *m* **1.** uygunsuzluk, yersizlik **2.** yakışıksızlık
**nelihev** *rd* **1.** düzensiz, tertipsiz **2.** düzensiz (dağınık kimse) **3.** dağınık (kendini ve düşüncelerine toparlamayan) * **vê gavê ez ne li hev im** şu anda kafam çok dağınık **4.** keyifsiz, hasta **5.** tuhaf, dengesiz, kafadan olan, tahtası eksik (ruh sağlığı yerinde olmayan) * **ev keçik yeke nelihev e** bu kız dengesizin biridir **6.** sarsantılı (düzenli olmayan, güven verici olmayan) **7.** gergin, sinirli **8.** uyumsuz, uyuşmaz **9.** biçimsiz, kalıpsız 10. der-

**tivêkdanîn** *m* ittifak yapma
**tivêk danîn** *l/gh* ittifak yapmak
**tivêl** *n* yüz hatları ~**ên (yekî) gir bûn** yüz hatları kaba olmak
**tivik** *bnr* tifık
**tivil** *n* **1.** kabuk **2.** yılan kavı
**tivinc** *bnr* tivanc
**tiving** *m* tüfek ~**avêtin** (an jî **berdan**) tüfek atmak veya sıkmak ~ **li ser ling (bar) bûn** ateş etmek üzere olmak ~ **spartin hev** tüfek çatmak ~ **teqandin** tüfek sıkmak veya patlatmak ~**ên wan bipaç bûn** kavgaları ciddi olmamak
**tivingavêj** *nd/nt* tüfek kullanıcısı
**tivingavêtin** *m* **1.** tüfek atma (veya sıkma) **2.** tüfek kullanma
**tiving avêtin** *l/gh* **1.** tüfek atmak (veya sıkmak) **2.** tüfek kullanmak
**tivingdank** *m* tüfeklik (tüfeklerin konulduğu yer)
**tivingdar** *rd* tüfekli
**tivingdaz** *nd/nt* tüfek kullanan
**tivingdazî** *m* tüfek kullanına
**tivingfiroş** *nd/nt* tüfekçi (satan kimse)
**tivingfiroşî** *m* tüfekçilik
**tivinghilgir** *nd/nt* tüfek kullanan
**tivinghilgirî** *m* tüfek kullanına
**tivingir** *nd/nt* tüfek kullanan
**tivingirî** *m* tüfek kullanma
**tivingker** *nd/nt* tüfekçi
**tivingkerî** *m* tüfekçilik
**tivingsaz** *nd/nt* tüfekçi (tüfek tamir eden kimse)
**tivingsazî** *m* tüfekçilik
**tivingvan** *dîr/n* tüfekçi (askeri sınıftan, tüfek işleriyle uğraşan kimse)
**tivingxane** *m* tüfekhane
**tiviqandin** *m* karşılatma, tesadüf ettirme
**tiviqandin** *l/gh* karşılatmak, tesadüf ettirmek
**tiviqîn** *m* karşılaşma, tesadüf etme
**tiviqîn** *l/ngh* karşılaşmak, tesadüf etmek
**tivir** *bot/m* **1.** turp (Raphanus sativus) **2.** turp (bu bitkinin etli, yenilen kökü) ~**a derewîn** acırga
**tivirg** *zo/m* üveyik (Streptopelia turtur)
**tivirik** *rd* semiz, besili, etine dolgun (insan ve hayvan için)
**tivirk** *bnr* tivirik
**tivîlk** *zo/m* üveyik (Streptopelia turtur)
**tivrik (I)** *bot/m* **1.** turp (Raphanus sativus) **2.** turp (bu bitkinin etli, yenilen kökü)
**tivrik (II)** *m* çapa
**tivrikkirin** *m* çapalama
**tivrikkirin** *l/gh* çapalamak
**tivrok** *bot/m* bir bitki adı
**tivriş** *b* at çağırma
**tivş** *bnr* tevş
**tivşal** *m* döverek liflere ayırma
**tivşal kirin** *l/gh* döverek liflere ayırmak
**tivşeber** *n* **1.** küçük, yassı, sivri ağızlı taş **2.** kaydırak (yassı kaygan çakıl)
**tivşik** *n* **1.** küçük, yassı, sivri ağızlı taş **2.** kaydırak (yassı kaygan çakıl)
**tivtîlik** *bot/m* bir bitki
**tiwan** *m* erk, kudret
**tiwana** *rd* kadir (gücü yeter)
**tiwandar** *rd* kadir, kudretli
**tiwane** erk, yetke
**tiwê** *b* buzağı kovma ünlemi
**tiwêj** *m* sav, iddia
**tiwêjer** *nd/nt* savcı
**tiwêjerî** *m* savcılık
**tiwê kirin** *l/gh* buzağı kovmak
**tiwêtiwê** *b* buzağı çağırma ünlemi
**tiwêtiwê kirin** *l/gh* buzağı çağırmak
**tiwîjandin** *m* **1.** iddia etme **2.** tahkik etme, gerçeğini tanıtlama
**tiwîjandin** *l/gh* **1.** iddia etmek **2.** tahkik etmek, gerçeğini tanıtlamak
**tiwîsî** *m* azık
**tiwîşû** *m* azık
**tix (I)** *m* tığ
**tix (II)** *m* harmanda samandan ayrılmış hububat yığını ~ **mor kirin** tane yığınını mühürleme, tane yığınını ölçüm ve bölüşmeye hazır hale getirilmesi ve kutsanması için özel şekil verme işlemi
**tix (III)** *rd* piç
**tixa (I)** *h* yazık
**tixa (II)** *n* ergenlik çağına gelmemiş Ermeni çocuğu
**tixêrîk** *m* çocuk doğunca verilen hediye
**tixis** *rd* **1.** gürbüz **2.** olgun (şişmana yakın, balık etinde) * **laşekî tixis** dolgun bir vücut
**tixisbûn** *m* gürbüzleşme
**tixis bûn** *l/ngh* gürbüzleşmek
**tixisî** *m* gürbüzlük
**tixisîbûn** *m* dolgunluk
**tixiskî** *rd* dolgunca
**tixiskîbûn** *m* dolgunlaşma
**tixiskî bûn** *l/ngh* dolgunlaşmak
**tixiskîbûyîn** *m* dolgunlaşış
**tixî** *rd* rezil
**tixîtî** *m* rezillik
**tixîrik** *n* erkek çocuğun doğumunda verilen çeşitli hediyeler
**tixmer** *rd* herşeyi yemeyen kimse, yemede seçici davranan kimse
**tixtixandin** *m* gıdıklama
**tixtixandin** *l/gh* gıdıklamak
**tixtixîn** *m* gıdıklanma
**tixtixîn** *l/ngh* gıdıklanmak
**tixûb** *n* **1.** sınır (komşu il, ilçe, köy veya kişilerin topraklarını birbirinden ayıran çizgi) **2.** sınır (iki komşu devletin topraklarını birbirinden ayıran çizgi) ~ **kişandin** sınır çekmek ~ **rast kirin** sınır çekmek (veya belirlemek) ~**ê xortan tune** gençlerin sınırı yoktur (asiliği belirtir) ~**ê xurtan nîn e** güçlüler için sınır yoktur

**tixûbdanî** *rd* **1.** sınırlanmış (sınırı belirlenmiş) **2.** sınırlanmış (belli bir sınır içinde bırakılmış, belirlenmiş)
**tixûbdanîn** *m* **1.** sınırlama (sınırını belirleme) **2.** sınırlama (belli bir sınır içinde bırakma, belirleme)
**tixûb danîn** *l/gh* **1.** sınırlamak (sınırını belirlemek) **2.** sınarlamak (belli bir sınır içinde bırakmak, belirlemek)
**tixûbdar** *rd* **1.** sınırlı (sınırı olan, bir sınırla ayrılmış olan) **2.** *bz* sınırlı, limited
**tixûbdarbûn** *m* sınırlanma
**tixûbdar bûn** *l/ngh* sınırlanmak
**tixûbdarkirin** *m* sınırlandırma
**tixûbdar kirin** *l/gh* sınırlandırmak
**tixûbdarkirî** *rd* sınırlandırılmış
**tixûbderî** *rd* sınırdışı edilmiş olan
**tixûbderîbûn** *m* sınırdışı olma
**tixûbderî bûn** *l/ngh* sınırdışı olmak
**tixûbderîbûyî** *rd* sınırdışı olmuş olan
**tixûbderîbûyîn** *m* sınırdışı oluş
**tixûbderîkirin** *m* sınırdışı etme
**tixûbderî kirin** *l/gh* sınırdışı etmek
**tixûbderîkirî** *rd* sınırdışı edilmiş olan
**tixûbker** *rd* sınırlayıcı
**tixûbkirin** *m* sınırlama
**tixûb kirin** *l/gh* sınırlamak
**tixûbkirî** *rd* **1.** sınırlı **2.** sınırlı (mahdutlu hale getirilmiş)
**tixûbparêz** *nd/nt* sınır muhafızı
**tixûbparêzî** *m* sınır muhafızlığı
**tixûm (I)** *n* an (iki tarla arasındaki sınır
**tixûm (II)** *n* **1.** tohum **2.** *mec* ırk
**tixûmperest** *nd/nt* ırkçı
**tixûmperestî** *m* ırkçılık
**tixûn** *m* dokunma **~î (yekî) bûn** -e dokunmak
**tixwîb** *bnr* tixûb
**tiyane** *m* tencere
**tiyar** *bnr* teyar
**tiyatro** *m* **1.** tiyatro (drama, komedi gibi edebî türlerin oynandığı yer) **2.** tiyatro (bu türleri izleyiciler önünde oynama sanatı) **3.** tiyatro (oyun yazma sanatı) **4.** tiyatro (yazılmış oyunların tümü)
**tiyatroger** *nd/nt* tiyatrocu
**tiyatrogerî** *m* tiyatroculuk
**tiyatrovan** *nd/nt* tiyatrocu (tiyatro işleten kimse)
**tiyatrovanî** *m* tiyatroculuk
**tiyen (I)** *m* oylum
**tiyen (II)** *m* hacim
**tiyîtî** *m* kayınlık, kayınçoluk
**tiz (I)** *m* eski tüfeklerde fıtil
**tiz (I)** *m* fit, kışkırtı (birini başkasına karşı kışkırtma) **(yek) ~ kirin** (birine) fit vermek (veya sokmak)
**tizane** *rd* alaylı
**tizbî** *m* tespih **~ kişandin** tespih çekmek
**tizbîh** *nd* mezarın üzerine uzunlamasına dizilen küçük taş dizisi
**tizik (I)** *m* makat, anüs, şerç, büzük
**tizik (II)** *rd* soytarı
**tizikandin** *m* kızdırma, kızıştırma
**tizikandin** *l/gh* kızdırmak, kızıştırmak
**tizirûg** *zo/m* sülük (Hirudo medicinalis)
**tizkirin** *m* **1.** fitleme, kışkırtma, kışkırtış **2.** pohpohlama **3.** kızdırma, kızıştırma **4.** dürtme (ucu sivri bir şeyle hafifçe itme)
**tiz kirin** *l/gh* **1.** fitlemek, kışkırtmak **2.** pohpohlamak **3.** kızdırmak, kızıştırmak **4.** dürtmek (ucu sivri bir şeyle hafifçe itmek)
**tizkirî** *rd* kışkırtılmış, kızdırılmış
**tizo mizo** *h* estek köstek **~ kirin** estek köstek etmek
**tizork** *zo/m* sülük (Hirudo medicinalis)
**Tî** *kîm* Ti (Titan'ın kısaltması)
**-tî** *rz/m* isimden isim yapım soneki * **hevaltî** arkadaşlık
**tî (II)** *lşk/m* ti * îşareta tiyê ti işareti
**tî (III)** *b* hayret ifadesi
**tî (IV)** *n* kayın, kayın birader, kayınço (kadına göre kocasının erkek kardeşi)
**tî (V)** *rd* susak (susuz, susamış olan) **(yek) ~ birin ser avê ~ anîn** (birine) külahını ters giydirmek **~ û birçî** aç susuz **~ û birçî man** aç susuz kalmak **~yê (tiştekî) bûn** susamak, özlemek (çok istemek)
**tîbaq** *n* tezad
**Tîbetî** *nd/rd* Tibetli
**Tîbetkî** *m* **1.** Tibetçe (Tibet dili) **2.** *h* Tibetlere yaraşır bir biçimde
**tîbûn** *m* susama
**tî bûn** *l/ngh* susamak
**tîbûnî** *m* susaklık, susuzluk
**tîbûyî** *rd* susuz (susamış olan)
**tîbûyîn** *m* susayış
**Tîcanî** *nd/rd* Ticanî (Kuzey Afrikada kurulmuş bir tarikat ve bu tarikata mensup kimse)
**Tîcanîtî** *m* Ticanilik
**tîdhi tîdhi** *b* köpek kovma ünlemi
**tîfil** *bnr* şîlik
**tîfo** *bj/m* tifo, kara humma
**tîftik** **1.** tiftik **2.** *rd* tiftik (bundan yapılmış olan)
**tîfûs** *bj/m* tifüs
**tîhiştin** *m* susatma, susuz bırakma
**tî hiştin** *l/gh* susatmak, susuz bırakmak
**tîhiştî** *rd* susatılmış, susuz bırakılmış olan
**tîj (I)** **1.** sivri **2.** keskin
**tîj (II)** *m* çentik **~ lê xistin** çentik atmak
**tîj (III)** *bnr* tîş
**tîjav** *m* sel
**tîj bûn** *bnr* tûj bûn
**tîjik** *n* **1.** sivri, sivrice **2.** keskin, keskince **3.** kıymık **4.** üvendire
**tîjikî** *rd* **1.** sivrice **2.** keskince
**tîjikî bûn** *m* sivrileşme
**tîjikî bûn** *l/ngh* sivrileşmek
**tîjikîkirin** *m* sivrileştirme
**tîjikî kirin** *l/gh* sivrileştirmek

**tîjk** *m* ışın
**tîj kirin** *bnr* tûj kirin
**tîjtîjî** *bnr* tîştîşî
**tîjtîjok** *rd* sivri uçlu
**tîk (I)** *m* bir halay türü
**tîk (II)** *bj/m* tik
**tîk (III)** *rd* **1.** dik (eğik olmayan) * **tîk sekiniye** dik durmuş **2.** dik (eğimi dike yakın) * **hevrazê tîk** dik yokuş **3.** dik (yatık durmayan, sert) * **porê tîk** dik saç **4.** dik (ses için; kalın, tok) **5.** dik (bakış için; sert) * **awirê tîk** dik bakış **6.** *mat* dik (birbirine dikey olan doğrulardan oluşmuş) **(tiştek)** ~ **danîn** diremek (dikine koymak) ~ **sekinîn** dik durmak, dimdik durmak, dikilip durmak (veya kalmak) ~ ~ dik dik ~ ~ **nihêrtin (an jî mêze kirin)** dik dik bakmak ~**a hişkolekî** kazık gibi (dimdik ve sert)
**tîkane** *rd/h* **1.** dikçe **2.** *mat* dikey
**tîkanekî** *h* dikine
**tîkanî** *rd* dikey
**tîkbûn** *m* **1.** diklenme, dikleşme (yokuş bir duruma gelme) **2.** dikelme, dikilme
**tîk bûn** *l/ngh* **1.** diklenmek, dikleşmek (yokuş bir duruma gelmek) * **rê ji nişka ve tîk bû** yol birden dikleşti **2.** dikelmek, dikilmek
**tîkbûyîn** *m* **1.** dikleniş, dikleşiş (yokuş bir duruma geliş) **2.** dikeliş, dikiliş
**tîkçûn** *m* **1.** dik gitme **2.** başının dikine gitme (kimsenin öğüdünü dinlememe, kendi bildiğini yapma)
**tîk çûn** *l/ngh* **1.** dik gitmek **2.** başının dikine gitmek (kimsenin öğüdünü dinlememek, kendi bildiğini yapmak)
**tîke (I)** *n* helik (duvar örülürken büyük taşların arasına konulan küçük taşlar)
**tîke (II)** *n* **1.** tike (et, ekmek, peynir vb. için) **2.** dürüm, dürmaç
**tîkegoşt** *m* et tikesi, kuş başı
**tîkekirin** *m* doğrama (eti keserek parçalama)
**tîke kirin** *l/gh* doğramak (eti keserek parçalamak)
**tîkekirî** *rd* doğranık, doğranmış olan
**tîker** *rd* susatıcı
**tîkgoşe** *mat/rd* dikgen
**tîkirin** *m* susatma
**tî kirin** *l/gh* susatmak
**tîkirî** *rd* susatılmış, susuz bırakılmış olan
**tîkî** *rd/h* dikçe
**tîkîtî** *m* diklik
**tîkkirin** *m* dikleştirme
**tîk kirin** *l/gh* dikleştirmek
**tîkkirî** *rd* dikleştirilmiş
**tîkkî** *h* dikine
**tîktîkî** *rd* diken diken, dikleşmiş, dik duruma gelmiş (saç, kıl vb. için)
**tîl (1)** *rd* kurnaz
**tîl (II)** *m* zıpzıp, misket, bilye * **lîstika tîlan** misket oyunu
**tîla** *ant/m* beze, gudde
**tîlawet** *m* tilâvet
**tîlolek** *m* bir tatlı adı
**tîlolîk** *m* muhallebi
**tîlotê** *m* fıskiye
**tîlotêzik** *m* fıskiye, fışkırık
**tîltîlok** *nd/nt* **1.** kikirik (zayıf, ince ve uzun boylu) **2.** sıska, debil, zayıf yapılı **3.** mumya (çok zayıf kimse), solucan gibi (soluk ve zayıf kimse)
**tîltîlokî** *rd* **1.** kikirikçe **2.** sıskaca, debilce **3.** cimbakuka, cılızca, çelimsiz, hıra
**tîltîlokîbûn** *m* sıskalaşma
**tîltîlokî bûn** *l/ngh* sıskalaşmak, sıskası çıkmak
**tîltîloktî** *m* **1.** kikiriklik **2.** sıskalık, debillik
**tîm** *m* **1.** takım, grup **2.** *sp* takım * **tîma sporê** spor takımı **3.** *lşk* tim ~ **a parêziyê** eskort
**tîmal** *bnr* tîmar
**tîmar (I)** *dîr/m* tımar
**tîmar (II)** *m* **1.** sağaltım, sağaltma (hastaya bakma) **2.** tedavi (yara bakımı) **3.** timar (binek hayvanların kıllarını, derisini temizleme) **4.** ıslah **5.** *mec* tedip uslandırma ~ **bûn 1)** tımar olmak, tedavi olmak, sağalmak **2)** ıslah olmak ~ **kirin 1)** tımar etmek, tedavi etmek, sağaltmak **2)** ıslah etmek ~**a hespan** manej ~**a taybetî** özel bakım veya tedavi
**tîmarbûn** *m* **1.** tımar olma, tedavi olma, sağalma **2.** ıslah olma
**tîmar bûn** *l/ngh* **1.** tımar olmak, tedavi olmak, sağalmak **2.** ıslah olmak
**tîmarbûn** *rd* **1.** tımar oluş, tedavi oluş, sağalış **2.** ıslah oluş
**tîmargeh** *m* tımarhane, ıslah evi
**tîmaristan** *m* tımarhane, ıslah evi
**tîmarker** *nd/nt* tımarcı, sağaltıcı
**tîmarkirin** *m* **1.** tımarlama, tedavi etme, sağaltma **2.** kaşağılama **3.** ıslah etme **4.** tedip etme, uslandırma, yola getirme
**tîmar kirin** *l/gh* **1.** tımarlamak, tedavi etmek, sağaltmak **2.** kaşağılamak **3.** ıslah etmek **4.** tedip etmek, uslandırmak, yola getirmek
**tîmarkirî** *rd* **1.** tımarlı, tedavi edilmiş **2.** tımarlı (timar edilmiş hayvan)
**tîmarxane** *m* **1.** tımarhane, akıl hastahanesi **2.** ıslah evi, ıslahane
**tîmik** *rd* kasis
**tîmsal** *n* timsal
**tîmseh** *zo/m* **1.** timsah (Crocodilus) **2.** *rd* timsah (bu hayvanın derisinden yapılan)
**tîmûs** *ant/m* timüs, özden
**tîn** *m* **1.** ısı **2.** hararet, sıcaklık * **tîna rojê** güneşin harareti **3.** nufüz, etkî * **agir tîna xwe dayê** ateş onu etkiledi ~ **dan** ısı vermek ~ **di (tiştekî) de çûn** ısınmaya yüz tutmak ~ **ketin (tiştekî)** (bir şey) ısınmak, ısınmaya yüz tutmak ~a cesta ajelan diriksel (veya diril) ısı ~**a (...) şikîn** (bir şeyin) etkisi kırılmak * **tîna sermayê şikiya** soğuğun etkisi kırıldı ~**a xwe**

dan hev birbirine alışmak ~a xwe şikandin susuzluğunu gidermek ~a xwe vekuştin susuzluğunu gidermek
**tîna germbûnê** *fiz* ısınma ısısı
**tînatî** *m* susuzluk
**tînayî** *m* susuzluk
**tîndan** *m* ısı verme
**tîn dan** *l/gh* ısı vermek
**tîndar** *rd* **1.** ısılı **2.** hararetli * **agirekî tîndar** hararetli bir ateş
**tîndayî** *rd* ılık
**tîndêr** *kîm/m* ısı veren, ekzotermik
**tînegerm** *rd* ılık
**tînegermî** *rd* **1.** ılıcak, ılıkça **2.** aşılama (soğuğa sıcak, sıcağa soğuk su katılarak elde edilmiş su) * **ava tînegermî** aşılama su
**tînegermîbûn** *m* ılınma, ılıma, ılıklaşma
**tînegermî bûn** */ngh* ılınmak, ılımak, ılıklaşmak
**tînegermîkirin** *m* **1.** ılındırma, ılıtına, ılıklaştırma **2.** aşılama (soğuğa sıcak, sıcağa soğuk su katma)
**tînegermî kirin** *l/gh* **1.** ılındırmak, ılıtmak, ılıklaştırmak **2.** aşılamak (soğuğa sıcak, sıcağa soğuk su katarak su elde etmek)
**tînegermîtî** *m* ılıklık
**tînegermoyî** *rd* ılıkça
**tîner** *m* tiner, inceltici
**tînerkêş** *nd/nt* tinerci, tiner bağımlısı kimse
**tînet (I)** *m* maneviyat
**tînet (II)** *fiz/m* tınnet, tını
**tîngerm** *bnr* tînegerm
**tîngir** *kîm/rd* endotermik
**tînik (I)** *m* ısı
**tînik (II)** *ant/m* **1.** soluk borusu **2.** gırtlak, imik * **bi tînika wî girt** imiğinden tuttu
**tîniqandin** *m* aşırıc derecede susatma
**tîniqandin** *l/gh* aşırıc derecede susatmak
**tîniqandî** *rd* aşırıc derecede susamış kimse
**tîniqîn** *m* aşırıc derecede susama
**tîniqîn** *l/ngh* aşırıc derecede susamak * **ez tîniqîm** ben çok susadım
**tînî (I)** *rd* **1.** ısıl **2.** *m* sıcaklık
**tînî (II)** *b* oynarken, oynaşırkan bir nida (çocuk dilinde)
**tînî (III)** *m* susama, susuzluk ~ya xwe kuştin (an jî **vekuştin**) susuzluğunu gidermek
**tînîbûn** *m* susanma
**tînî bûn** *l/ngh* susanmak
**tînîbûyîn** *m* susanış
**tînnerm** rd yumuşak başlı kimse
**tînok** *rd* susak (susayan, susamış olan)
**tînokî** *rd* **1.** susakça **2.** susak, hararetli * **filan kes zehf tînokî ye av vedixwe venaxwe têr nabe** adam o kadar hararetlmi bir türlü suya doymuyor
**tînokîbûn** *m* susanma
**tînokî bûn** *l/ngh* susanmak
**tînokîtî** *m* susaklık
**tînokîbûyîn** *m* susanış
**tînoş** *rd* susak (susayan, susamış olan) **~a (yekî) şikestin** susuzluğu gitmek **~a (yekî) xwe şikandin** (an jî **vekuştin**) susuzluğu gidermek
**tînoşîbûn** *m* susama
**tînoşî bûn** *l/ngh* susamak
**tînoşîbûyîn** *m* susayış
**tînoşîkirin** *m* susatma
**tînoşî kirin** *l/gh* susatmak
**tînoşîtî** *m* susaklık, susuzluk **~ya xwe şikandin** susuzluğunu gidermek
**tînoşkî** *rd* **1.** susakça **2.** susak, hararetli
**tînoyî** *rd* ılıkça
**tînoyîbûn** *m* ılıklaşma
**tînoyî bûn** *l/ngh* ılıklaşmak
**tînoyîkirin** *m* ılıklaştırma
**tînoyî kirin** *l/gh* ılıklaştırmak
**tînpîv** *fiz/m* ısıölçer, kalorimetre
**tînpîvî** *m* ısı ölçümü, kalorimetri
**tînsar** *rd* soğukça
**tînstîn** *rd* ısıalan
**tînşikestî** *rd* **1.** ılık **2.** ılımlı
**tînşikên** *rd* susuzluk giderici, hararet giderici, kandırıcı (içme isteğini giderici)
**tînşikênî** *m* kandırıcılık
**tînşikînok** *rd* susuzluğu giderici, hararet giderici
**tînşîr** *rd* ılık
**tînşîrî** *rd* ılıkça
**tîntêçûn** *m* ısınma, ısınmaya yüz tutma
**tîn tê çûn** *l/bw* ısınmak, ısınmaya yüz tutmak
**tîp (I)** *m* harf ~ **û ziwa** yazı tura **~a biçûk** küçük harf **~a dubare** şedde **~a girdek** büyük harf **~a hûrdek** küçük harf **~a kelijandinê** *rz* kaynaştırma harfi **~a navbirê** *rz* kaynaştırma harfi **~ên gotîk** gotik harfler
**tîp (II)** *m* **1.** tip * **du leyzvanê di eynî tîpî de** aynı tipte iki oyuncu **2.** *mec* tip (ilgi çekici, değişik kimse) **3.** *şn/wj* tip (oyun karakteri)
**tîp (III)** *m* **1.** ekip, grup * **tîpeke tiyatroyê ya ji deh kesan pêkhatî** on kişilik bir tiyatro ekibi **2.** takım, grup **3.** öbek, küme, grup (aynı yerde bulunan kimse veya nesneler bütünü) **4.** *mzk* grup, topluluk (müzik grupları için) * **tîpa muzîkê** müzik grubu **5.** *lşk* grup, deste, takım **6.** *lşk* kol, devriye **7.** *lşk* tugay **~a mehterê** mehter takımı
**tîp (IV)** *m* dalga * **gumîna tîpan e tê** dalgaların sesi var
**tîpa dubare** *nd* şedde (aynı karakterin iki kez yazılma durumu)
**tîpa girdek** *nd* büyük harf
**tîpa hûrdek** *nd* küçük harf
**tîpa navbir** *nd* kaynaşma harfi
**tîpandin** *m* dikte etme, harfi harfine yazma
**tîpandin** *l/gh* dikte etmek, harfi harfine yazmak
**tîpa ravekirinê** *nd* harfi tarif
**tîpguherîn** *m* **1.** çevriyazı, transkripsiyon **2.** transliterasyon, harf çevirisi ~ **kirin 1)** transkribe etmek **2)** harf çevrisi yapmak

**tîpguhêr** *nd/nt* 1. çevriyazı yapan 2. harf çevrisi yapan kimse
**tîpguhêrî** *m* 1. çevriyazı, transkripsiyon 2. transliterasyon, harf çevirisi ~ **kirin** 1) transkribe etmek 2) harf çevrisi yapmak
**tîpguhêrîkirin** *m* 1. transkribe etme 2. transliterasyon yapma, harf çevirisi yapma
**tîpguhêrî kirin** *l/gh* 1. transkribe etmek 2. transliterasyon yapma, harf çevirisi yapma
**tîpguhêz** *nd/nt* 1. çevriyazı yapan 2. harf çevrisi yapan kimse
**tîpguhêzî** *m* 1. çevriyazı, transkripsiyon 2. transliterasyon, harf çevirisi ~ **kirin** 1) transkribe etmek 2) harf çevrisi yapmak
**tîpguhêzîkirin** *m* 1. transkribe etme 2. transliterasyon yapma, harf çevirisi yapma
**tîpguhêzî kirin** *l/gh* 1. transkribe etmek 2. transliterasyon yapma, harf çevirisi yapma
**tîpguhêzîkirî** *rd* 1. transkribe edilmiş 2. harf çevirisi yapılmış olan
**tîpguhêzîtî** *m* 1. çevriyazı yapma 2. 2. transliterasyon yapma, harf çevirisi yapma
**tîpguhêzker** *nd/nt* 1. çevriyazı yapan 2. harf çevrisi yapan kimse
**tîpîk** *rd* tipik
**tîpnivîs** *m* daktilo
**tîpografî** *m* tipografi
**tîpolojî** *m* tipoloji
**tîprêz** *nd/nt* dizgici, dizici, dizmen, mürettip
**tîprêzgeh** *m* dizgi yeri, mürettiphane
**tîprêzî** *m* 1. dizgi, dizim 2. dizgicilik, mürettiplik ~**ya (....) kirin** dizmek * **min tîprêziya nivîsarên pirtûkê kir** kitabın yazılarını dizdim
**tîprêzîkirin** *m* dizim, dizme (basım evinde harfleri yan yana getirerek yazı düzenleme) * **tîprêzîkirina pirtûkê kuta bû** kitabın dizimi bitti
**tîprêzî kirin** *l/gh* dizmek (basım evinde harfleri yan yana getirerek yazı düzenlemek)
**tîprêzîkirî** *rd* dizili, dizilmiş
**tîprêzîtî** *m* dizgicilik, mürettiplik
**tîprêzker** *nd/nt* dizgici, dizici, dizmen
**tîprêzkerî** *m* dizgicilik, dizicilik, dizmenlik
**tîprêzkirin** *m* dizme (basım evinde harfleri yan yana getirerek yazı düzenleme)
**tîprêz kirin** *l/gh* dizmek (basım evinde harfleri yan yana getirerek yazı düzenlemek)
**tîprêzxane** *m* dizgi yeri, mürettiphane
**tîptîpî** *h* 1. grup gurup 2. kamp kamp
**tîptîpîbûn** *m* 1. gruplaşma, gruplara ayrılma 2. kamplaşma
**tîptîpî bûn** *l/ngh* 1. gruplaşmak, gruplara ayrılmak 2. kamplaşmak
**tîptîpîkirin** *m* gruplandırma
**tîptîpî kirin** *l/gh* gruplandırmak
**tîpwerger** *nd/nt* 1. çevriyazı yapan 2. harf çevrisi yapan kimse
**tîpwergerî** *m* 1. çevriyazı, transkripsiyon 2. transliterasyon, harf çevirisi ~ **kirin** 1) transkribe etmek 2) harf çevrisi yapmak
**tîqetîq (I)** *h* dos doğru
**tîqetîq (II)** *m* kahkaha ~ jê çûn kahkaha atmak ~ **pê ketin** kahkahayı patlatmak
**tîqetîq jê çûn** *l/bw* kahkahayı basmak (koparmak veya salıvermek)
**tîqetîq kirin** *l/gh* kahkaha atmak
**tîqîn** *m* kahkaha ~ ketin (yekî) kahkahayı basmak (koparmak veya salıvermek)
**tîqîn jê çûn** *l/bw* kahkahayı basmak (koparmak veya salıvermek)
**tîqîn pê ketin** *l/bw* kahkahayı basmak (koparmak veya salıvermek)
**tîqtîq** *m* kahkaha ~ jê çûn kahkaha atmak
**Tîr** *ast/m* Merkür
**tîr (I)** *m* 1. ok (yayla atılan, ucunda sivri bir demir bulunan ince ve kısa tahta çubuk) 2. ok (yön göstermek amacıyla belli yerlere konulabilen, oka benzeyen işaret) 3. ok (bazı âletlerde veya araçlarda düz ve uzun bölüm) 4. dingil, ok demir 5. *mat* ok 6. mec anî keskin sancı dayanılmaz sancı * **tîr kete pişta min** sırtıma acı bir sancı girdi ~ **avêtin** ok atmak ~ **avêtin kêlekê** böğrü sancımak ~ **ji kevan derketin** ok yaydan çıkmak ~ **ji kevan pekîn** ok yaydan çıkmak ~ **û kevan** kemane, burgu ~ **û pişk** (an jî **peşk)** yazı tura ~ **û pişk avêtin** yazı tura atmak, kura çekmek ~**a dilan** kara sevda ~**a dilan lê ketin** kara sevdaya tutulmak, merak getirmek ~**a eşqê** gönül belâsı ~**a eşqê lê ketin** kara sevdaya tutulmak, sevdalanmak ~**a kevanê** fevri olan kimse ~**ên cencerê** harman döğme makinasının dişli kolları
**tîr (II)** *m* oklava, ince oklava ~**a êrîşteyê** yufka ekmeği ve erişte hamuru açmada kullanılan oklava
**tîr (III)** *rd* 1. koyu (sulu karşıtı) * **dewê tîr** koyu ayran * **motê tîr** koyu pekmez 2. yoğun (sıvılar için) 3. tıkız, katı (yoğunluğu çok fazla) 4. ağdalı, kıvamlı 5. *kîm* konsantre ~**a avê** suyun derin olduğu yer
**tîr (IV)** *m* taife
**tîr (V)** *m* uzun ve ince tarla parçası
**tîraj** *m* tiraj
**tîrak** *m* asabiyet, sinir
**tîrakî** *rd* sinirli, asabî
**tîrakîbûn** *m* asabîleşme
**tîrakî bûn** *l/ngh* asabîleşmek
**tîrakîtî** *m* asabîlik, sinirlilik
**tîran** *n* 1. tiran 2. *rd/mec* tiran, despot
**tîrar** *m* 1. tas 2. *rd* tas (bir tasın alacağı miktarda olan)
**tîrat** *şn/m* tirat
**tîrave** *bj/m* kanser
**tîravebûn** *m* kanserleşme
**tîrave bûn** *l/ngh* kanserleşmek
**tîravenasî** *m* kanser bilimi, kanseroloji

**tîraveyî** *rd* kanserli
**tîravêj** *nd/nt* okçu, ok atıcısı
**tîravêjî** *sp/m* okçuluk, ok atıcılığı
**tîrawî** *bj/m* kangren
**tîrawîbûn** *m* kangrenleşme
**tîrawî bûn** *l/ngh* kangrenleşmek
**tîrawîbûyî** *rd* kangrenli
**tîrawîbûyîn** *rd* kangrenleşme
**tîrbaran** *m* oklama (üstüne ok yağdırma) ~ **kirin** oklamak, üstüne ok yağdırmak
**tîrbaz** *nd/nt* okçu
**tîrbazî** *m* okçuluk
**tîrbuşon** *m* tirbuşon
**tîrbûn** *m* **1.** koyulaşma **2.** yoğunlaşma, tekasüf etme **3.** tıkızlaşma **4.** ağdalanma, ağdalaşma **5.** *kîm* derişme, konsantrasyon
**tîr bûn** *l/ngh* **1.** koyulaşmak **2.** yoğunlaşmak, tekasüf etmek **3.** tıkızlaşmak **4.** ağdalanmak, ağdalaşmak * **rîçal tîr bû** reçel ağdalandı **5.** *kîm* derişmek
**tîrbûnî** *m* **1.** koyuluk **2.** yoğunluk **3.** tıkızlık **4.** derişiklik
**tîrbûyî** *rd* **1.** koyulaşmış **2.** yoğunlaşmış **3.** tıkızlaşmış **4.** ağdalı, ağdalaşmış olan **5.** *kîm* derişik
**tîrbûyîn** *m* **1.** koyulaşış **2.** yoğunlaşış, tekasüf ediş **3.** tıkızlaşış **4.** ağdalanış, ağdalaşış **5.** *kîm* derişme
**tîrcimoq** *rd* uzun boylu
**tîrdan** *m* sancıma, zonklama
**tîrdan** *l/gh* sancımak, zonklamak
**tîrdayîn** *m* sancıyış, zonklayış
**tîrdank** *m* okluk, sadak
**tîre (I)** *m* **1.** tire (kısa çizgi) **2.** *mat* kiriş
**tîre (II)** *sos/m* boy, kabile, klân
**tîredar** *n* oklava
**tîrekî** *mat/n* köşegen
**tîrekirin** *m* tireleme
**tîre kirin** *l/gh* tirelemek
**tîremar** *zo/n* ok yılanı
**tîrenan** *n* yufka ekmek
**tîrendaz** *nd/nt* okçu
**tîrerast** *rd* dümdüz
**tîrevan** *nd/nt* okçu
**tîrevanî** *m* okçuluk
**tîrêj** *m* ışın ~**a rojê** güneş ışını ~**a roniyê** *fiz* ışık ışını ~**a kesk û sor 1)** gökkuşağı **4)** *fiz* tayf ~**a tavê** güneş ışını ~**ên alfayê** *fiz* alfa ışınları ~**ên betayê** *fiz* beta ışınları ~**ên enfrarûjê** enfraruj ışınları ~**ên gamayê** *fiz* gama ışınları ~**ên gerdûnî (an jî kozmîk)** *fiz* kozmik ışınlar ~**ên x'ê** x ışınları
**tîrêja roniyê** *fiz/nd* ışık ışını
**tîrêja rontgenê** *nd* röntgen ışını
**tîrêjdan** *m* ışın yayma
**tîrêj dan** *l/gh* ışın yaymak
**tîrêjdar** *rd* ışınlı
**tîrêjdarî** *m* ışınlılık
**tîrêjdayî** *rd* ışın yaymış olan
**tîrêjdayîn** *m* ışın yayış
**tîrêjder** *rd* ışın yayıcı
**tîrêjên rontgenê** *fiz/nd* röntgen ışınları
**tîrêjgerîn** *biy/m* fotokinezi
**tîrêjî** *rd* ışınsal
**tîrêjk** *m* ışın
**tîrêjkar** *rd* ışınlayıcı
**tîrêjkirin** *m* ışınlama
**tîrêj kirin** *l/gh* ışınlamak
**tîrêjkirî** *rd* ışınlamış
**tîrêjn** *m* ışın
**tîrêjnas** *nd/nt* ışınbilimci, radyolog
**tîrêjnasiyî** *rd* ışınbilimsel, radyolojik
**tîrêjnasî** *m* ışınbilim, radyoloji
**tîrêjpîv** *m* ışınölçer, radyometre
**tîrêjpîvî** *m* ışın ölçümü, radyometri
**tîrêjstêr** *ast/m* akan yıldız, meteor
**tîrêjtav** *m* güneş ışını
**tîrêjzan** *nd/nt* ışınbilimci, radyolog
**tîrêjzaniyî** *rd* ışınbilimsel, radyolojik
**tîrêjzanî** *m* ışınbilim, radyoloji
**tîrênc** *bnr* tîrêj
**tîrgeh** *m* yoğuşturma yeri, deriştirme yeri
**tîrêjdar** *rd* ışınlı
**tîrhetav** *m* güneş ışın
**tîrhewcar** *n* saban oku
**tîrik (I)** *m* **1.** ok, küçük ok **2.** ok (yön göstermek amacıyla belli yerlere konulabilen, oka benzeyen işaret) **3.** ok (bazı âletlerde veya araçlarda düz ve uzun bölüm) **4.** kara saban oku **5.** *mat* ok
**tîrik (II)** *m* ağızlık, sigaralık, sigara ağızlığı
**tîrik (III)** *m* ince oklava, küçük oklava (ekmek açmada kullanılan oklava)
**tîrik (IV)** *m* **1.** akrep (saatın iki ibresinden küçüğü) * **tîrika seatê** saatın akrebi **2.** ibre * **tîrika jimêrkerê** sayaçın ibresi ~**a saetê** saat oku
**tîrika cixareyê** *nd* sigaralık, sigara ağızlığı
**tîrika erebeyê** *nd* arış, araba oku
**tîrika tevnê** *nd* mekik (dokuma tezgahlarında)
**tîrî (I)** *nd/m* **1.** dolu (yuvarlak ve düzensiz biçimli saydam buz parça durumunda yağış türü) **2.** *m* yıldırım
**tîrî (II)** *m* **1.** koyuluk **2.** yoğunluk **3.** kıvam, koyuluk ~**ya rehayî** salt yoğunluk
**tîrîbûn** *m* kıvamlanma
**tîrî bûn** *l/ngh* kıvamlanmak
**tîrk** *m* **1.** akrep (saatın iki ibresinden küçüğü) **2.** ibre
**tîrke** *m* ibre * **tîrkeya jimêrkerê** sayaçın ibresi
**tîrker (I)** *kîm/rd* **1.** yoğuşturucu **2.** *fiz* yoğunlaç
**tîrker (II)** *nd/nt* okçu (ok yapıp satan)
**tîrkerî** *m* okçuluk
**tîrkevan** *n* ok takımı
**tîrkêş** *nd/nt* okçu (okçuluk sporunu yapan kimse)
**tîrkêşî** *sp/m* okçuluk
**tîrkirin (I)** *m* oklama, **okla vurma**

**tîrkirin (II)** *m* **1.** koyulaştırma (sıvı şeyler için) **2.** terbiye yapma (bazı yemeklerin suyunu koyulaştırma) **3.** yoğunlaştırma
**tîr kirin (I)** *l/gh* oklamak, okla vurmak
**tîr kirin (II)** *l/gh* **1.** koyulaştırmak (sıvı şeyler için) **2.** terbiye yapmak (bazı yemeklerin suyunu koyulaştırmak) **3.** yoğunlaştırmak
**tîrkirî** *rd* **1.** koyulaştırılmış **2.** yoğunlaştırılmış olan
**tîrkom** *m* ışınların odaklandığı nokta
**tîrmar** *n* ok yılanı
**tîrmeh** *m* temmuz (yılın 31 gün süren yedinci ayı)
**tîrnîşan** *m* ok işareti
**tîroîd** *ant/m*tiroit
**tîroj** *m* ışın, ışık hüzmesi
**tîrojk** *m* ışın, ışıncık
**tîrok** *m* **1.** küçük ok **2.** ok biçiminde çubuk
**tîrokalsîtonîn** *m* tirokalsitonin
**tîroksîn** *m* tiroksin
**tîroşk** *bnr* tîrojk
**tîrpîv** *m* yoğunluk ölçer
**tîrvan** *nd/nt* **1.** okçu (ok yapıp satan) **2.** okçu (okçuluk sporunu yapan kimse)
**tîrvanî** *m* **1.** okçuluk **2.** *sp* okçuluk
**tîryak** *bnr* tiryak
**tîsmask** *bot/m* su kenarlarında yetişen, acımsı bır tada sahip yenilebilir bir bitki
**tîş (I)** *b* **1.** davara seslenme nidası **2.** keçi sürme nidası
**tîş (II)** *m* **1.** çatlak, yarık (kayadaki, taştaki çatlak) **2.** çatlak (herhangi bir şeyin yarılma ve çatlama sonucu oluşmuş parçası) **3.** yırtmaç **4.** lime, yırtık parça **5.** parça, uzun ince parça * **axa we çar tîş kirin** toprağınızı dört parça ettiler ~ **bûn 1)** çatlamak, yarılmak * **mirov zebeş diavêje nav avê tîş dibe** insan karpuzu suya attı mı yarılıyor **2)** yırtılmak, çatlamak, çatlaklar oluşmak ~ **kirin 1)** çatlatmak, yarmak **2)** yırtmak ~ **lê ketin 1)** parçalanmak **2)** yarılmak ~ **lê vebûn** çatlamak, yarılmak ~ **û bertîş** lime lime ~ **û bertîşî bûn** lime lime olmak, paçavraya dönmek ~ **û rîtol** yırtık pırtık ~ **û rîtolê (yekî) li ba bûn** hırtlambası çıkmak ~ **û telîş** yırtık pırtık ~ **û telîş li ba bûn** yırtık pırtıkları savurulmak, hırtlambası çıkmak ~ **û telîşê** (yekî) **li ba bûn** yırtık pırtıkları savurulmak
**tîşik (I)** *bnr* têjik
**tîşik (II)** *m* **1.** lime **2.** dilim, parça (ince uzun parça) * **tîşikek zebeş bide min** bana bir dilim karpuz ver **3.** yırtmaç
**tîşk** *m* entarilere dikilmiş muska şeklindeki parça
**tîşkirin** *m* **1.** yarma **2.** yırtma
**tîşkirin** *l/gh* **1.** yarmak **2.** yırtmak
**tîşlêketin** *m* çatlama, yarılma (ağaç ve taşların çatlaması)
**tîşlêketin** *l/bw* çatlamak, yarılmak (ağaç ve taşların çatlaması)
**tîşort** *n* tişört
**tîşqilandin** *m* sataştırma
**tîşqilandin** *l/gh* sataştırmak
**tîşqilîn** *m* sataşma
**tîşqilîn** *l/gh* sataşmak
**tîştîş** *h* **1.** yarık yarık **2.** lime lime, sırım sırım
**tîştîşî** *rd* **1.** yarık yarık olmuş, çatlak çatlak olmuş **2.** lime lime olmuş, sırım sırım olmuş **3.** paramparça
**tîştîşîbûn** *m* **1.** yarılma, yarık yarık olma **2.** lime lime olma, sırım sırım olma
**tîştîşî bûn** *l/ngh* **1.** yarılmak, yarık yarık olmak **2.** lime lime olmak, sırım sırım olmak
**tîştîşîkirin** *m* **1.** yarma, yarık yarık etme **2.** ime lime etme, sırım sırım etme (bez, kumaş parçası için) **3.** paçavraya çevirme
**tîştîşîkirin** *l/gh* **1.** yarmak, yarık yarık etmek **2.** ime lime etmek, sırım sırım etmek (bez, kumaş parçası için) **3.** paçavraya çevirmek
**tîştîşkî** *h* **1.** çatlak matlak, yarık marık **2.** lime lime, sırım sırım
**tît** *rd* süslü, şık ~ **kirin** süslemek, güzelleştirmek (beden için) ~ **û vît** süslü püslü (kadın) ~ **û vît kirin** süsleyip püslemek
**tîtal (I)** âdet, töre * **rewişt û tîtalên zewacê** evlilik âdetleri
**tîtal (II)** *rd* **1.** yakışıklı, şık **2.** atletik (vücudu gelişmiş, biçimli, güzel yapılı genç) ~**ê xortan** filînta gibi
**tîtalak** *m* uç (yaprak için)
**tîtalek** *m* yaprak ucu
**tîtalî** *m* **1.** yakışıklılık **2.** *rd* atletik (vücudu gelişmiş, biçimli) * **kesekî tîtalî bû** atletik biriydi
**tîtal kirin** *l/gh* güzelleştirmek (beden için)
**tîtan** *kîm/m* titan (kısaltması Ti)
**tîtav** *zo/m* sülün (Phasianus colchicus)
**tîtbûn** *m* **1.** süslenme, süslenip püslenme **2.** süslenme (beden için)
**tît bûn** *l/gh* **1.** süslenmek, süslenip püslenmek **2.** süslenmek (beden için)
**tîte** *m* süs
**tîtik (I)** *rd* **1.** süslü, süslü püslü, şık **2.** yakışıklı
**tîtik (II)** *m* **1.** oyuncak **2.** cici (şey) **3.** *rd* oynak
**tîtik (III)** *m* cam
**tîtik (IV)** *rd* üstü başı yırtık pırtık
**tîtikandin** *m* süsleme, güzelleştirme
**tîtikandin** *l/gh* süslemek, güzelleştirmek
**tîtikandî** *rd* süslemnik, güzelleştirmiş olan
**tîtikbûn** *m* üstü başı yırtık pırtık olma
**tîtik bûn** *l/ngh* üstü başı yırtık pırtık olmak
**tîtikên rengîn** *nd* konfeti, küçük kâğıt parçacıkları
**tîtikîn** *m* süslenme, güzelleştirilme
**tîtikîn** *l/ngh* süslenmek, güzelleştirilmek
**tîtikkirin** *m* süsleme, süsleyip püsleme
**tîtik kirin** *l/gh* süslemek, süsleyip püslemek * **xwe tîtik kir** kendini süsleyip püsledi
**tîtilewêskî** *rd* çıt kırıldım

**tîtilewêskîbûn** *m* çıt kırıldım olma
**tîtilewêskî bûn** *l/ngh* çıt kırıldım olmak
**tîtilmehesî** *rd* süslü püslü
**tîtilmehesîbûn** *m* süslenip püslenme
**tîtilmehesî bûn** *l/ngh* süslenip püslenmek
**tîtirmehesî kirin** *m* süsleyip püsleme
**tîtirmehesî kirin** *l/gh* süsleyip püslemek
**tîtirwask** *zo/m* yağmur kuşu (Charadrius fluvialis)
**tîtî (I)** *m* araba (çocuk dilinde)
**tîtî (II)** *zo/nt* dudu
**tîtkirin** *m* **1.** süsleme, süsleyip püsleme **2.** güzelleştirme, süsleme (beden için)
**tît kirin** *l/gh* **1.** süslemek, süsleyip püslemek **2.** güzelleştirmek, süslemek (beden için)
**tîtolek** *m* başın tepesi
**tîtraqûşî** *rd* avanak, alık, bön, budala
**tîtraqûşîbûn** *m* avanaklaşma, alıklaşma, bönleşme
**tîtraqûşî bûn** *l/ngh* avanaklaşmak, alıklaşmak, bönleşmek
**tîtraqûşîtî** *m* avanaklık, alıklık, bönlük
**tîvêl** *n* yüz hatları **~ên (yekî) gir bûn** yüz hatları kaba olmak
**tîvil (I)** *zo/m* serçe (Passer domesticus)
**tîvil (II)** *n* zar * **tîvilê pîvazê** soğan zarı
**tîwtîw** *b* köpek çağırma ünlemi
**tîx (I)** *n* kılıç
**tîx (II)** *m* hat **~a badayı** burmalı hat **~a rast** düzgün hat, doğru hat **~a şikeste** kırık hat **~a vîç (an jî xwar)** eğik hat **~ên hevsû** denk hatlar
**tîxdar** *rd* **1.** hatlı **2.** hat hat taranmış saç
**tîxtîxe** *rd* hat hat şeklinde olan
**tîz (I)** *bnr* naz û tîz
**tîz (II)** *m* çifte (hayvan çiftesi)
**tîz (III)** *bnr* tûj
**tîz (IV)** *m* kaçamak (bir şeyden kaçınma yolu)
**tîz (V)** *m* ustura
**tîz (VI)** *rd* tiz
**tîzav** *m* sülfürik asit
**tîzbûn** *m* tizleşme
**tîz bûn** *l/ngh* tizleşmek
**tîzek** *rd* **1.** alıngan, darılgan, kırılgan (kolay ve çabuk gücenen) **2.** küseğen **3.** osuruğu cinli **4.** sulu gözlü zırtlak
**tîzekî** *rd* **1.** alınganca, darılganca, kırılganca **2.** küseğence **3.** osuruğu cinlice **4.** sulu gözlü zırtlakça
**tîzekîtî** *bnr* tîzektî
**tîzektî** **1.** alınganlık, darılganlık, kırılganlık **2.** küseğenlik **3.** osuruğu cinlilik **4.** sulu gözlü zırtlaklık
**tîzik (I)** *rd* **1.** alıngan, darılgan, kırılgan (kolay ve çabuk gücenen) **2.** küseğen **3.** osuruğu
**tîzik (II)** *m* çifte (hayvan çiftesi) **~ avêtin** çifte atmak, kıç atmak (hayvan çifte atmak) * **bidî tîzikan nedî tîzikan tê bidî heqê dîzikan** uçarı kaçarı yok (bu işi yapacaksın)
**tîzikandin** *m* **1.** darıltma, gücendirme **2.** gocundurma
**tîzikandin** *l/gh* **1.** darıltmak, gücendirmek **2.** gocundurmak
**tîzikandî** *rd* **1.** darıltılmış, gücendirilmiş olan **2.** gocunmuş olan
**tîzikî** *rd rd* **1.** darıltılmış, gücendirilmiş olan **2.** gocunmuş olan
**tîzikîn** *m* **1.** alınma, darılma, gücenme (herhangi bir şeyden dolayı birine kırılma) **2.** gocunma
**tîzikîn** *l/ngh* **1.** alınmak, darılmak, gücenmek (herhangi bir şeyden dolayı birine kırılmak) * **ji ber ku gotinên min li hesabê wî nehat, tîzikî** söylediklerim hoşuna gitmedi diye darıldı **2.** gocunmak
**tîziqandin** *m* gocundurma
**tîziqandin** *l/gh* gocundurmak
**tîziqîn** *m* gocunma
**tîziqîn** *l/ngh* gocunmak
**tîzmar** *zo/n* **1.** yer solucanı (Lumbricus terrestris) **2.** solucan (yağmurdan sonra topraktan çıkan solucan) **3.** küçük yılan, yılan yavrusu **4.** *mec* farkına varılması güç genç düşman
**tîzmask** *bot/m* bir çeşit pancar
**tîzok** *rd* **1.** alıngan, darılgan, kırılgan (kolay ve çabuk gücenen) **2.** çabuk gocunan
**tîzokî** *rd* alınganca, darılganca, kırılganca
**tîzoktî** *m* alınganlık, darılganlık, kırılganlık
**Tl** *kîm* Tl (talyumê'un kısaltması)
**Tm** *kîm* Tm(tulyum'un kısaltması)
**to** *n* **1.** kaymak (sütün ve yoğurdun yüzeyinde zar durumunda toplanan yağlı katman) **2.** kaymak (yağmur ve selden sonra toprağın üzerinde kalan özlü tabaka) **3.** *mec* kaymak (bir şeyin en iyi ve seçkin bölümü) **~yê (tiştekî) ji xwe birin (an jî hilanîn)** (bir şeyin) kaymağını almak **~yê ser beroşê dixwe** çok seçici ve bencil kimse
**tobe** *m* **1.** tövbe **2.** tövbe, aman (bir suçun bağışlanmasının istendiğini anlatır) * **tobe, ez careke din nakim** aman, bir daha yapmam **~ be** hiç yok, yok oğlu yok **~ estexfurelah** tövbe esteğfurullah
**tobedar** *rd* tövbeli
**tobekar** *rd* tövbekâr
**tobekarî** *m* tövbekârlık
**tobekirin** *m* tövbe etme
**tobe kirin** *l/gh* tövbe etmek
**tobekirî** *rd* tövbeli, tövbe etmiş olan
**tobeşikên** *rd* tövbesini bozan kimse
**tod** *zo/n* baykuş
**tof (I)** *bnr* tov
**tof (II)** *m* belâ **ketin ~a (yekî) 1)** belâsına düşmek, ağına düşmek **2)** tongaya basmak (veya düşmek)
**tof (III)** *m* **1.** öbek, küme, grup (aynı yerde bulunan kimse veya nesneler bütünü) **2.** ekip, takım * **dê tofek li ber vê bînahiyê rawes-**

te bu binayı bir takım bekleyecek 3. *lşk* grup 4. bölüm, kısım (kol, dal) 5. *lşk* bölük **~a hejmaran** *mat* birimler bölüğü **~ên peyvan** *rz* söz öbekleri

**tofan** *m* 1. tufan * **tofana Nuh Pexember** Nuh tufani 2. tufan (şiddetli yağmur veya yağış, sağanak) * **tofana teyrokê** dolu sağnağı 3. *mec* fırtına (güç atlatılan kötü durum) 4. mec belâ

**tofanî** *rd* tufanca

**tofên peyvan** *rz/nd* söz bölükleri

**tofikî** *rd* grupvarî

**tofikîbûn** *m* gruplaşma

**tofikî bûn** *l/ngh* gruplaşmak

**tofil** *bnr* tovil

**tofiroş** *nd/nt* kaymakçı (satan kimse)

**toftofî** *h* 1. öbek öbek, küme küme 2. grup grup

**toftofîbûn** *m* 1. öbek öbek olma 2. gruplaşma, gruplara ayrılma

**toftofî bûn** *l/ngh* 1. öbek öbek olmak 2. gruplaşmak, gruplara ayrılmak

**toftofîkirin** *m* 1. öbek öbek etme 2. gruplandırma

**toftofî kirin** *l/gh* 1. öbek öbek etmek 2. gruplandırmak

**tog (I)** *rd* sürtük, düşük ahlâklı kadın

**tog (II)** *rd* köpek ve tazıdan olan melez hayvan

**togirtin** *m* kaymaklanma, kaymak bağlama (veya tutma)

**to girtin** *l/gh* kaymaklanmak, kaymak bağlamak (veya tutmak)

**tohmet** *m* töhmet

**tok (I)** *m* 1. gerdanlık 2. tasma

**tok (II)** *m* kalemtıraş

**tok (III)** *m* teker çemberi

**tok (IV)** *n* kaymak

**tok (V)** *n* Çiğdem, soğan vb. bitkilerin tanesi

**tokel** *m* şekil

**tokme** *h* tümü, hepsi, olduğu gibi * **dinya tokme ewr e** dünya olduğu gibi bulut

**tokme girtin** *l/gh* hepsini kaplamak

**toksîkolog** *nd/nt* toksikolog

**toksîkolojî** *m* toksikoloji

**toksîkoman** *rd* toksikoman

**toksîkomanî** *m* toksikomani

**toksîn** *m* toksin

**tokyo** *m* tokyo (bir tür terlik)

**tol (I)** *m* öç, intikam ~ **girtin** öç almak, intikam almak ~ **hilanîn** öç almak ~ **hildan** öç almak ~ **vekirin** öç almak, intikamını almak ~ **stendin** öç almak ~ **xwestin** kan istemek (öldürülen birinin ücünü istemek) **~a xwe hilanîn** (an jî **hildan)** intikamını almak, hınç (veya hınçını) almak **~a xwe jê hilanîn** -den öcünü almak, intikamını almak **~a xwe jê rakirin (stendin** an jî **hilanîn)** -den öcünü almak **~a xwe jê vekirin** -den öcünü almak **~a xwe rakirin** öcünü almak, intikamını almak **~a xwe stendin** (an jî **girtin)** öcünü almak, intikamını almak **~a xwe wergirtin** öcünü almak, intikamını almak

**tol (II)** *m* kılağı, zağ

**tol (III)** *rd* sürtük, yosma, çapkın kadın

**tol (IV)** *n* 1. melez köpek 2. kısa tüylü köpek 3. *argo* delikanlı

**tol (V)** *m* yuvarlanma

**tolajo** *rd* kin güdücü, intikamcı

**tolajotî** *m* kin güdücülük, intikamcılık

**tolam** *m* kıvrılma (köpekler için)

**tolam girtin** *l/gh* kıvrılmak (köpekler için)

**tolan** *m* köpek yuvası

**tolaq** *m* dolak

**tolaz** *rd/nd* 1. aylak 2. çapkın, hovarda, zampara 3. *argo* genç delikanli ~ **bûn** çapkın olmak **~ê bêkêr** mahale çapkını

**tolazane** *h* çapkınca, hovardaca

**tolazbûn** *m* çapkınlaşma

**tolazbûyîn** *m* çapkınlaşma

**tolazî** *m* çapkınlık, hovardalık, zamparalık ~ **kirin** çapkınlık yapmak, hovardalık etmek, zamparalık etmek, fındık kırmak

**tolazîbûn** *m* hovardalaşma

**tolazî bûn** *l/ngh* hovardalaşmak

**tolazkî** *rd/h* çapkınca, hovardaca

**tolazok** *rd/h* çapkın, hovarda

**tolazokî** *rd/h* çapkınca, hovardaca

**tolbav** *argo/m* sürtük, yosma

**tolbaz** *nd/nt* öç alıcı, intikamcı

**tolbazî** *m* öç alıcılık, intikamcılık

**tolbûn (I)** *m* 1. sürtüklük, yosmalık 2. yosmalaşma

**tolbûn (II)** *m* yuvarlanma

**tol bûn** *l/ngh* yuvarlanmak

**tolbûyîn** *m* yuvarlanış

**tole (I)** *n* zağar

**tole (II)** *m* öç, intikam

**tole (III)** *m* aşüfte, sürtük, yosma, zilli (kadın)

**toleme** *bj/m* dolama

**tolerans** *m* 1. tolarans, hoş görü, müsamaha 2. *tek* tolerans

**tolevan** *n* zağarcı

**tolevanî** *n* zağarcılık

**tolexwaz** *nd/nt* intikamcı, intikam alma yanlısı

**tolexwazî** *m* intikamcılık, intikam alma yanlısı olma

**tolgir** *nd/nt* intikamcı

**tolgirî** *m* intikamcılık

**tolgirtin** *m* öç alma, intikam alma

**tol girtin** *l/gh* öç almak, intikam almak

**tolgirtî** *rd* öç almamış, intikam almış olan

**tolgîn** *bot/m* sardunya (Geranium)

**tolhilanîn** *m* öç alma, intikam alma

**tol hilanîn** *l/gh* öç almak, intikam almak

**tolhildan** *m* öç alma, intikam alma

**tol hildan** *l/gh* öç almak, intikam almak

**tolhildanî** *h* öç alırcasına

**tolhilder** *nd/nt* intikamcı

**tolhilderî** *m* intikamcılık
**tolhilîn** *rd* öç alıcı
**tolik** *bot/m* ebe gümeci (Malva siyivestris)
**tolikvan** *m* ebegümeci toplamaya çıkan
**tol jê hildan** *l/bw* -den öç almak
**tol kirin** *l/gh* yuvarlamak
**tolkirin** *m* yuvarlama
**tolme** *m* dolma (yemeği)
**tolpe** *m* köpek yemeği
**tolstendin** *m* öç alma, intikam alma
**tol stendin** *l/gh* öç almak, intikam almak
**tolstîn** *rd* öç alıcı
**toltajî** *n* **1.** tazıyla köpeğin birleşmesinde meydana gelen yavru **2.** *argo* baldırıçıplak, lümpen
**toltî** *m* aşüftelik, yosmalık
**tolvedan** *m* öç alma, intikam alma
**tol vedan** *l/gh* öç almak, intikam almak
**tolvedar** *rd* öç alıcı
**tolveker** *rd* öç alıcı
**tolvekirin** *m* öçalma, intikam alma
**tol vekirin** *l/gh* öçalmak, intikam almak
**tolwarî** *h* intikamvari
**tolwergir** *nd/nt* intikamcı
**tolwergirî** *m* intikamcılık
**tolwergirtin** *m* öç alma, intikam alma
**tol wergirtin** *l/gh* öç almak, intikam almak
**tolwergirtî** *rd* öç almış, intikam almış olan
**tom (I)** *m* belâ * **ketin toma (yekî)** belâsına düşmek
**tom (II)** *m* mide fesadı
**tomar (I)** *m* tomar
**tomar (II)** *m* **1.** tac **2.** tacın etrafındaki puşu
**tomar (III)** *m* **1.** kayıt (bir yere mal ederek deftere geçirme) **2.** kayıt (bir yazının, bir hesabın tarih, numara vb. nin veya kopyasının bir yazılı bulunması) **3.** kayıt (ses veya resmi, manyetik bant üzerine geçirme işlemi) **4.** tescil **~î (...) bûn** -e kaydolmak **~ î (...) kirin** -e kaydetmek, -e yazmak, kayda geçirmek (bir yere kaydetmek) * **zarok tomarî dibistanê kirin** çocuğu okula yazdılar
**tomarbûn** *m* **1.** kaydolma **2.** tescil olma
**tomar bûn** *l/ngh* **1.** kaydolmak **2.** tescil olmak
**tomarbûyîn** *m* **1.** kaydoluş **2.** tescil oluş
**tomargeh** *m* studyo, kayıt stüdyosu
**tomarîk** *m* perçem, tepelik (saç tepeliği)
**tomarkar** *nd/nt* kaydedici, mukayyit
**tomarkarî** *m* kaydedicilık, mukayyitlik
**tomarker** *nd/nt* **1.** kaydedici, mukayyit **2.** *fiz/m* imleç, kaydedici
**tomarkerî** *m* kaydedicilık, mukayyitlik
**tomarkirin** *m* **1.** kaydetme (yazma) **2.** kaydetme (herhangi bir şeyi bir yere mal etme, bir şeyin tarih, numara veya adını bir deftere geçirme) **3.** kaydetme (hatırlamak için not etme) **4.** kaydetme (sesi veya resmi manyetik bant üzerine geçirme) **5.** kaydetme (sıcaklık, basınç gibi bir niceliğin değişkenliğini tespit etme) **6.** tescil etme
**tomar kirin** *l/gh* **1.** kaydetmek (yazmak) **2.** kaydetmek (herhangi bir şeyi bir yere mal etmek, bir şeyin tarih, numara veya adını bir deftere geçirmek) * **rojbûyîna lawikê tomar kiriye?** çocuğun doğumunu kaydetmiş mi? **3.** kaydetmek (hatırlamak için not etmek) **4.** kaydetmek (sesi veya resmi manyetik bant üzerine geçirmek) * **dengê min tomar kire band** sesimi kasete kaydetti **5.** kaydetmek (sıcaklık, basınç gibi bir niceliğin değişkenliğini tespit etmek) **6.** tescil efmek
**tomarkirî** *rd* **1.** kayıtlı, kaydedilmiş **2.** sicilli, tescilli
**tomarname** *m* kütük * **tomarnameya xwendevanan** öğrenci kütükleri
**tomast** *n* bir tür tulum peyniri
**tomat** *m* afet, belâ
**tomate** *m* domates
**tomatîk** *m* otomatik silâh
**tomav** *fizy/m* atmık, bel suyu, meni
**tombak** *m* **1.** tombak **2.** *rd* tombak (bundan yapılmış şey)
**tombala** *m* tombala
**tombalakar** *nd/nt* tombalacı
**tombalakarî** *m* tombalacılık
**tombekî** *bot/m* tömbeki (Nicotiana persica)
**tomerî** *h* **1.** toptan **2.** *rd* toplu (hep bir arada) * **peymangirêdana tomerî** toplu sözleşme
**tomerîfiroş** *nd/nt* toptancı (toptan satan)
**tomerîfiroşî** *m* toptancılık
**tomet (I)** *m* **1.** töhmet, kabahat **2.** ayip, utanç **3.** bahane, gerekçe
**tomet (II)** *m* müsibet
**tomij** *bnr* tamijî
**tomik (I)** *m* belâ * **ez ketim tomika te** senin belâna bulaştım ~ **bi ser de hatin** başına bir belâ gelmek
**tomik (II)** *n* **1.** yem (tavuk, kuş yemi) **2.** tuzak yemi
**tomofîl** *m* otomobil
**tomografî** *m* tomografi
**tompiz** *n* **1.** topuz, gürz **2.** *rd* tombul, tombalak * **zilamekî tompiz** tombul bir adam **3.** tombul (dolgun, etli)
**tompizkî** *h* tombulca
**tompizkîbûn** *m* tombullaşma
**tompizkî bûn** *l/ngh* tombullaşmak
**tompizkîtî** *m* tombulluk
**ton (I)** *m* ton (ağırlık birim)
**ton (II)** *mzk/n* **1.** ton (insan veya çalgı seslerinin yükseklik veya alçaklık derecesi) **2.** ton (konuşmada sesin duyguları belirtecek biçimde çıkması) **3.** *rz* ton, titrem **~a derbirînê** anlatım tonu~ **vebêjanê** anlatım tonu
**tonaj** *m* tonaj
**tonalîte** *mzk/m* tonalite
**tone** *nd/rd* **1.** maskara **2.** maskara (rezil, haysiyetsiz)
**tonebûn** *m* maskara **olma**

**xwas** *rd* **1.** yalın, çıplak **2.** yalın ayak
**xwasila** *bnr* gebol
**xwasî** *m* **1.** yalın, çıplak * **lingê wî xwasî bû** ayağı yalındı **2.** yalın ayak olma halı
**xwaşîl** *bot/m* sütleğen (Euphorbia)
**-xwaz** *rz/m* 'xwestin' fiilinden sıfat ve isim yapım soneki * **bela*xwaz*** belâcı * **azadîxwaz** özgürlükçü
**xwaz** *m* isteme
**xwaza** *rd* isteyen, isterikli
**xwaze** *m* mecaz
**xwazker** *rd* talip
**xwazmanî** *rd* mecazî
**xwazûk** *rd* **1.** isterikli **2.** *mec* dilenci
**xwazûkî** *rd* **1.** isteriklice **2.** *mec* dilencice
**xwazûktî** *m* **1.** isteriklilik **2.** *mec* dilencilik
**xwe-** *rz* öz, oto önek olarak **xwe*geran özyönetim * *xwe*rexne özeleştir
**xwe** *c/m* **1.** kendi, öz, nefis * **divê ku mirov tenê li xwe nefikire** insan yanlız nefsini düşünmemeli * **xwe bigire** kendini kolla * **hay ji xwe be** kendine dikkat et **2.** kendi (kişiler üzerinde direnilerek durdurulduğunda söylenir) * **bila ew bi xwe bê** kendisi gelsin **3.** kendi (bir işte başkalarının etkisi bulunmadığını anlatır) * **min bi xwe kir** ben kendim yaptım **4.** kendi (kendisi, kendileri, o ve onlar yerine) * **gelo ew bi xwe ne li mal in?** kendileri evde yoklar mı? **5.** kendi (iyelik zamiriyle) * **ev mala min bi xwe ye** bu kendi evim * **ramana me bi xwe** kendi düşüncemiz ~ **amade kirin 1)** kendini hazırlamak **2)** çemrenmek, paçaları sıvamak ~ **anîn bîra (yekî)** andırmak ~ **anîn çêkirinê** dövülmeyi hak etmek, aranmak, kaşınmak ~ **anîn çêran** küfür yemiyi hak etmek ~ **anîn gotinan** lâf yemiyi hak etmek ~ **anîn lêdanê** dövülmeyi hak etmek, aranmak, kaşınmak ~ **anîn lêxistinê** dövülmeyi hak etmek, aranmak, kaşınmak * **te xwe tam aniye lêxistinê** sen aranıyorsun âdeta ~ **avêtin (cihekî)** (bir yere) kendini atmak, (bir yere) kapağı atmak ~ **avêtin (tiştekî)** -e atlamak (binmek) * **ez dixwazim xwe biavêjim keştiyekê û herim** gemiye atlayıp gitmek istiyorum ~ **avêtin (yekî) 1)** (birine) ricada bulunmak **2)** (birine) sığınmak (güvenmek, yardım istemek veya ummak) ~ **avêtin agir** kendini ateşe atmak ~ **avêtin avê 1)** suya girmek **2)** suya atlamak ~ **avêtin ber bextê (yekî)** (birine) sığınmak (güvenmek, yardım istemek veya umnak) ~ **avêtin bext** bahtına sığınmak ~ **avêtin bext û namûsa (yekî)** (birine) sığınmak (güvenmek, yardım istemek veya ummak) ~ **avêtin bext û tora (yekî)** (birinin) bahtına sığınmak, (birine) sığınmak ~ **avêtin bextê (yekî)** (birinin) bahtına sığınmak, ocağına düşmek, (birine) sığınmak ~ **avêtin der û dawê (yekî)** eteğine düşmek (veya sarılmak), eline eteğine sarılmak ~ **avêtin derê (yekî)** (birinin) dergahına sığınmak ~ **avêtin dexaleta (yekî)** (birine) sığınmak (güvenmek, yardım istemek veya ummak) ~ **avêtin dexlê (yekî)** (birine) sığınmak ~ **avêtin erdê** kendini yere atmak ~ **avêtin her du piyan** köstek vurmak (güreşte) ~ **avêtin hêşata (yekî)** (birine) sığınmak) ~ **avêtin kerî û lalîtiyê** kendini sağırlığa vermek (veya vurmak) ~ **avêtin lingê hemberê xwe** çift dalma (güreşte) ~ **avêtin mehdera (yekî)** (birinin) şefaatine sığınmak ~ **avêtin meydanê** meydana atılmak ~ **avêtin nav (tiştekî)** lâfa atılmak ~ **avêtin nav agir** kendini ateşe atmak ~ **avêtin nav dest û piyên (yekî)** ayaklarına kapanmak ~ **avêtin navê** lâfa atılmak, ortaya atılmak ~ **avêtin nav rastê** meydana atılmak ~ **avêtin pê** dalmak (güreşte) ~ **avêtin pêsîra (yekê)** ocağına düşmek ~ **avêtin pêş** öne atılmak ~ **avêtin pêşiyê** öne atılmak ~ **avêtin pişta (yekî)** ardılmak, sırtına asılmak ~ **avêtin rastê** meydana atılmak ~ **avêtin ser (...)** -e abanmak, üzerine atlamak ~ **avêtin ser (tiştekî)** yüklenmek (kendi ağırlığını başka bir şey üzerine vermek, bedeniyle abanmak) ~ **avêtin ser cila (yekî)** eşiğine yüz sürmek ~ **avêtin ser der û dawê (yekî)** eteklemek ~ **avêtin ser dest û piyên (yekî)** ayağına düşmek, eteğine düşmek (veya sarılmak), eline ayağına kapanmak (sarılmak veya düşmek), (birinin) dizlerine kapanmak ~ **avêtin ser siya piştê** yan gelip yatmak, yan gelmek ~ **avêtin serê 1)** -e abanmak, üzerine çullanmak **2)** -e kapanmak (yüzü, gövdesi bir yere gelecek biçimde eğilmek) * **xwe avête ser kurê xwe** çocuğunun üstüne kapandı ~ **avêtin sîperê 1)** siperlenmek **2)** (bir şeyi veya yeri) siper almak ~ **avêtin talûkeyê** tehlikeye atlamak, kendini tehlikeye atmak ~ **avêtin stûyê hev** (birbirine) sarılmak ~ **avêtin tor û bextê (yekî) 1)** (birine) sığınmak, eteğine yapışmak (veya sığınmak), eşiğine yüz sürmek **2)** koltuğunun altına sığınmak ~ **avêtin xaret û xîretên (yekî)** (birine) sığınmak, ayağına düşmek ~ **avêtin xetereyê** tehlikeye atlamak, kendini tehlikeye atmak ~ **behicandin** tatlı canını sıkmak ~ **berdan deştê** düze inmek ~ **berdan ser çokan** (an jî **ejnûyan)** dizlerinin üstüne çökmek, diz üstüne çökmek ~ **berdest kirin** birine teslim olmak ~ **bi ber ba xistin** (birine) aldırmak ~ **bi (yekî) de rûçikandin** varını yoğunu birine vermek, sahiplenmek ~ **bi (yekî) re daxistin** (biriyle) boy ölçmek ~ **bi dest re** (an jî **ve) berdan** teslim olmak (bir kadın bir erkeğe kendini vermek) ~ **bi diyarî (yekî) xistin** birine uğramak ~ **bi erdê re kaş kirin** sürünmek (sürünerek ilerlemek) ~

**bi heft avan şûştin** kendini ak pak etmek ~ **bi heft û nîvan girê dan** iki dirhem bir çekirdek (çok güzel ve özenli giyinmek) ~ **bi kar û bar kirin 1)** hazırlığını yapmak, hazırlanmak **2)** çemrenmek, paçaları sıvamak ~ **bi (yekî) re daxistin** (birisiyle) boy ölçüşmek ~ **bi keyso meyso kirin** kılığına çeki düzen vermek ~ **bi paş ve kişandin** geri çekilmek ~ **bi ser de dadan** -e abanmak ~ **bi ser hev dan** sıkışmak (dar bir yere zorlasığmak) ~ **bi ser hev de dan** sığışmak ~ **bi ser û guh kirin** çulu düzmek veya düzeltmek (maddi durumu iyileşmek) ~ **bi** ~ kendi kendine ~ **bi (tiştekî) zanîn** kendini fasulye gibi nimetten saymak ~ **bi zimanê xwe dan dest** kendini ele vermek ~ **bi zimanê xwe dan girtin** kendini ele vermek ~ **bi zorekê avêtin (cihekî)** (kendini) dar atmak * **mêrikê reben xwe bi zorekê avête malê** zavallı adam, kendini dar eve attı ~ **bi zorekê jê avêtin** -den dar kaçmak (istemediği bir çevreden kendini dışarı atmak) ~ **bi zorekê avêtin cihekî û ruhê xwe xelas kirin** canını (bir yere) zor atmak ~ **bidin alî** *b* savulun, açılın, destur ~ **bikim çend parçe** kaç parça olayım ~ **biqelêşe** *g/h* ancak (olsa olsa, en çok, daha çok, güçlükle) * **ev pênûs xwe biqelêşe pênc milyon lîra dike** bu kalem ancak beş milyon lira eder ~ **boyax kirin** boyanmak, boya kullanmak (makyaj yapmak) ~ **cidî kirin** ciddileşmek, takınmak ~ **çeng kirin** üzerine atlamak ~ **çengî kirin** üzerine atlamak, -e saldırmak ~ **dadana bi ser de** abanma ~ **dakirin avê** suya girmek ~ **dan (cihekî)** çekilmek (bir yere, bir duruma geçmek) * **xwe daye goşe** köşeye çekilmiş ~ **dan (karekî)** kendini kaptırmak (uğraşmaya başladığı bir işten kendini kurtaramamak) **3)** yumulmak, girişmek, saldırmak ~ **dan (tiştekî) 1)** (bir şeye) kendini vermek (vurmak veya çalmak) * **xwe daye xebatê** kendini çalışmaya vermiş **2)** dayanmak (bütün gücünü kullanarak bir işi yapmak) * **bi hemî hêza xwe ve, xwe dan erebeyê** bütün güçleriyle arabaya dayandılar **3)** sarılmak (büyük bir istekle kendini vermek) * **piştî ku derbasî pola duduyan bû hîn bêhtir xwe da dersên xwe** ikinci sınıfa geçince daha fazla derslerine sarıldı ~ **dan (tiştekî) 1)** üstüne kapanmak, aralıksız çalışmak **2)** kendini vakfetmek ~ **dan alî 1)** (bir kimse) kayıplara karışmak **2)** *argo* toz olmak, gözden kaybolmak ~ **dan alî Xwedê** kendini dine vermek ~ **dan banî** yukarı tarafa çekilmek ~ **dan belayê** belâ aramak, belâsını aramak ~ **dan ber (tiştekî) 1)** başında durmak, nöbetini tutmak **2)** -e yanaşmak (gemi, vapur gibi; iskeleye, kıyıya varmak) ~ **dan ber barê (yekî)** (birine) yardımcı olmak, yardım etmek, (birine) destek çıkmak ~ **dan ber bêhna (yekî)** (birinin) ağız kokusunu çekmek ~ **dan ber hev** ölçüşmek * **were em xwe bidin ber hev ka kî dirêj e kî kin e** gel ölçüşelim, kim uzun kim kısaymış ~ **dan ber periyê** köşeye oturmak (kız için, gelin olmak) ~ **dan ber sîberê** gölgelenmek ~ **dan ber tavê** güneşlemek, güneşlenmek, güneş banyosu yapmak ~ **dan bin barê xwar-** muhtaca yardım elini uzatmak ~ **dan çiya 1)** dağa çıkmak **2)** dağa çıkıp ona sığınmak ~ **dan dest 1)** kendini ele vermek **2)** yakayı ele vermek ~ **dan diyar 1)** seyretmek, izlemek **2)** uzaktan bakmak (veya seyirci kalmak) ~ **dan dîn** kendini dine vermek ~ **dan ecibandin** varlık göstermek ~ **dan erdê** küsmek, küsüp gelmemek ~ **dan fesadiyan** kendini fesada vermek ~ **dan kêleka (yekî) 1)** (birinin) yanına oturmak **2)** (birinin) yanında yer almak, saf tutmak ~ **dan nivîsandin** kendini yazdırmak (veya kaydetmek) ~ **dan nîşandan** kendini göstermek * **bêdeng nemînin, ca xwe bidin nîşandan** haydin susmayın, kendinizi gösterin bakalım ~ **dan pişta (yekî)** (birine) arka çıkmak ~ **dan qunc** kenara çekilmek ~ **dan rê** yola koyulmak ~ **dan ser (tiştekî) 1)** -e kapanmak (yüzü, gövdesi bir yere gelecek biçimde eğilmek) **2)** kendini bırakmak (çevreyle ilişkisini keserek yalnız bir konuyla ilgilenmek) ~ **dan ser behra aqil 1)** düşünceye dalmak **2)** dalıp gitmek ~ **dan ser bextê (yekê)** kızın bahtına mani olmak ~ **dan ser pozê (tiştekî)** ilişmek (bir şeyin kenarına kısa bir süre için oturmak) * **xwe da ser pozê sedrê** sedire köşeden ilişti ~ **dan ser serê (yekî)** başına dikilmek (birinin yanında uzaklaşmamak, uno denetimi altında bulundurmak) ~ **dana tavê** güneş banyosu yapmak ~ **dan ser (yekî) 1)** (birini) kayırmak, arka çıkmak **2)** (birine) sahip çıkmak, kollamak **3)** üstüne saldırmak ~ **dan serê** sıkı çalışmak, asılmak ~ **danîn ser (...)** -e konmak * **çivîk xwe danî ser guliyê darê** kuş ağacın dalına kondu ~ **danîna li kerîtiyê** dumamazlıktan gelme ~ **danîna li nezaniyê** bilmemezlikten gelme ~ **danîna li xamiyê** bilmemezlikten gelme ~ **di avê de kirin** suya dalmak ~ **di ber (...) de edem kirin** saçını süpürge etmek ~ **di ber (...) de pûç kirin** saçını süpürge etmek ~ **di ber her tiştî re kirin** kendini ilgilendirmeyen işlere karışan ~ **di ber (tiştekî) re kirin** sokulmak, sokuşmak ~ **di ber re kirin 1)** sokulmak, sokuşmak **2)** söze atılmak, ortaya atılmak ~ **di ber tiştên mezin re kirin** başından büyük işlere girişmek (veya kalkışmak) ~ **di (yekî) dan 1)** sürtünüp durmak **2)** (birinin) burnuna girmek ~ **di kewara garis û dexlê de dîtin** kendini darı ambarında

görmek ~ **di mirovan dan** yüze gülmek (sevimli görünmeye çalışmak) ~ **di nav re kirin** sokuşmak ~ **di rûyê (yekî) de neêxistin** hayır diyememek, söylenmesi gereken şeyi zamanında söylememek ~ **di ser re avêtin** üstünden atlamak ~ **dirêjî (tiştekî) kirin 1)** -e uzanmak **2)** -e saldırmak ~ **dîtin nedîtin 1)** kendini bildi bileli **2)** kendini bilmek (kendisinin ve çevresinin bilincine varmak) ~ **dikirin rûnê ser nan** yağcılık yapmak ~ **dûrî civatê dan** kendini topluluktan ayrı durmak ~ **eyan kirin 1)** kendini ayan beyan etmek **2)** (kendi) maskesini atmak ~ **fedayî (...) kirin 1)** kendini birine feda etmek **2)** -e adamak (kendini bir şey uğruna feda etmek) ~ **gewz kirin** çulu düzmek veya düzeltmek (maddi durumu iyileşmek) ~ **giran kirin** kendini ağır satmak ~ **gihandin (tiştekî) 1)** (bir şeye) ulaşmak **2)** -e ulaşmak (elde etmek, erişmek) ~ **girê da bi heft û nîvan** iki dirhem bir çekirdek (çok güzel ve özenli giyinmek) ~ **giro miro kirin** sinirlenmek, diklenmek ~ **givaştin ser hev** büzülmek ~ **(tiştek) hesabandin 1)** kendini birşey saymak **2)** geçinmek, taslamak * **ew jî xwe şair dihesibîne** o da şair geçiniyor ~ **hewaguhêzî kirin** hava değiştirmek (iklimi değişik bir yere gidip bir süre oturmak) ~ **hêlekan kirin** sallanmak (salıncak, hamak v. de kendini sallamak) ~ **hilanîn li erdê xistin 1)** zıplamak **2)** tepki gösterip kabul etmemek, red etmek ~ **hîn kirin** kendini alıştırmak ~ **hînî (...) kirin** kendini (bir şeye veya kimseye) alıştırmak ~ **jê bi zor û kutek filitandin 1)** (birinden) kendini zor belâ kurtarmak **2)** (bir yere) kendini dar atmak ~ **jê bi zorekê xelas kirin** (birinden) kendini zor belâ kurtarmak ~ **jê dan paş** adımını geri almak (başladığı bir işten geri dönmek) ~ **jê dûr êxistin** -den uzak durmak ~ **jê dûr girtin** kendini bir şeyden uzak tutmak ~ **jê filitandin 1)** -den kendini kurtarmak **2)** başından atmak (yapılması güç bir işi yapmaktan kurtulmak) **3)** ayağının bağını çözmek (serbest davranmasını engelleyen ilişkilere son vermek) **4)** *argo* satmak * **eger ku ez karibim xwe jê bifilitînim ez dê werim ba we** onu satabilsem size geleceğim **5)** pösteyi kurtarmak (hoş olmayan bir durumdan kurtulmak) ~ **jê hêvişandin** (birinden) sakınmak, korumak ~ **jê himet nekirin** -den sakınmamak ~ **jê nedan paş** (bir iş yapmaktan, birinden) geri kalmamak ~ **jê nekirin** -den ilişkisini kesmemek, selâmı sabahı kesmemek ~ **jê piştrast kirin** eşeğini (veya atını) sağlam kazığa bağlamak ~ **jê re hazir kirin 1)** -e kendini hazırlamak **2)** *mec* soyunmak ~ **jê re kirin erd** (an jî ax û xwelî) (birine) çok saygı göstermek, varını yoğunu ona peşkeş çekmek ~ **jê re kirin sîper** (bir şeye veya kimseye kendini) siper etmek ~ **jê rihet kirin 1)** -den kurtulmak **2)** safra atmak ~ **jê şûştin** işin içinden çıkmak (veya sıyrılmak) ~ **jê xelas kirin 1)** -den kendini kurtarmak **2)** ayağının bağını çözmek (serbest davranmasını engelleyen ilişkilere son vermek) **3)** pösteyi kurtarmak (hoş olmayan bir durumdan kurtulmak) **4)** işin içinden çıkmak (veya sıyrılmak) **5)** safra atmak ~ **ji adet derxistin 1)** açılıp saçılmak (kadın için; çok açık saçık giyinmeye başlamak) **2)** paskalya yumurtası gibi (yüzüne çok alık sürenler için) ~ **ji balê nedan alî** başına dikilmek (birinin yanında uzaklaşmamak, uno denetimi altında bulundurmak) ~ **ji ber çavan dan alî** göze görünmemek (ortaya çıkmamak, ortalıkta dolaşmamak, saklanmak) ~ **ji ber (yekî) çep kirin** (birinden) saklanmak ~ **ji ber dan alî** -den kaçmmak ~ **ji ber (yekî) dan alî** (birinden) kaçmak ~ **ji ber pozê (yekî) nedan alî** burnundan ayrılmamak * **bila nebêjin ku bi şev û roj xwe ji ber pozê keçikê nade alî** demesinler ki gece gündüz kızın burnundan ayrılmıyor ~ **ji ber (...) weşandin** -den çekilmek ~ **ji berê dan alî** -den bucak bucak kaçmak ~ **ji binê eba dernexistin** gerçek kişiliğini ortaya çıkarmamak, gerçek kişiliğini dışa vurmamak ~ **ji bîr kirin 1)** unutmak **2)** dalmak **3)**yozlaşmak, assimile olmak, özünden uzaklaşmak ~ **ji cihê xwe neleqandin** kılını kıpırdatmamak (veya oynatmamak) ~ **ji dil dan (tiştekî)** (bir şeye) kendini tam vermek ~ **ji erka (peywir** an jî **vatiniya) xwe kirin** görevden ayrılmak ~ **ji gunehan weşandin 1)** arınmak (ruhun tutkulardan temizlenmesi) **2)** günah çıkarmak (Hristiyanlarda) ~ **ji (cihekî) kirin** (bir yerden) elini ayağını kesmek (veya çekmek) ~ **ji mesrefê nedan paş** masraflardan kaçınmamak ~ **ji mêran girtin** erkekten kaçmak, örtünmek, saklanmak (kadın için) ~ **ji dîn û îman kirin 1)** kendini dinden imandan etmek **2)** yalan yere yemin etmek ~ **ji dû nedan alî** peşini bırakmamak, peşinden ayrılmamak ~ **ji nav milet dan alî** bir köşeye çekilmek ~ **ji navê dan alî** aradan çekilmek ~ **ji nivîskariyê re hazir kiriye** yazarlığa soyunmak **(yek)** ~ **ji qata mêran hesibandin** kendini adamdan saymak ~ **ji reha qûnê şidandin** var gücüyle bağırmak, kıçına zor vermek ~ **ji rê bernedan** yolu takip etmek, belli bir yöne gitmek ~ **ji tiştên nepak bêrî kirin** tezkiyesini düzeltmek (ahlâhça kötü tanınmışken durumunu düzeltmek) ~ **ji Xwedê kirin** (birinin) günahını almak, yalan yere konuşmak ~ **kêmî (yekî) dîtin** -den kendini aşağı görmek * **Nevîn tim xwe kêmî mirovan dîtibû** Nevin insanlardan kendini hep aşağı gör-

müştü ~ **kirin (cihekî)** -e kapanmak * **xwe kiriye hundir û misêwa dixebite** eve kapanmış, habire çalışıyor ~ **ax û xwelî** aşırı saygı göstermek ~ **kirin ber çavê (yekî)** (birinin) damarına girmek ~ **kirin ber devê (yekî)** burnunun dibine sokulmak ~ **kirin ber loman** adının kötüye çıkmasına sebep olmak ~ **kirin binê deyn** borca girmek, borç altına girmek ~ **kirin bîra (yekî)** kendini hissettirmek **(yek)** ~ **kirin cihê merivan** (an jî **mirovan**) kendini adam yerine koymak ~ **kirin çav** satmak (bir kimse kendini olduğundan daha değerli göstermek) ~ **kirin çavên (hevalan)** kendini satmak (kendisinde olmayan iyi nitelikleri varmış gibi göstermek) ~ **kirin çavên (yekî)** (birinin) gözüne girmek ~ **kirin çincîla (yekî)** (birine) sığınmak, (birinin) şefaatine sığınmak ~ **kirin dar** kendini kasmak ~ **kirin dilan** kalbine girmek ~ **kirin dilê (yekî)** kalbine girmek ~ **kirin hevalê (yekî)** **1)** kendini başkasıyla bir tutmak **2)** (birinin) düzeyine inmek ~ **kirin kurîşk** büklüm püklüm olmak, sınık olmak ~ **kirin mesrefê** masrafa girmek ~ **kirin nav dest û piyan** kendini alçaltmak ~ **kirin nav tiştan** söze atılmak ~ **kirin nav xeberdanê** söze atılmak ~ **kirin qalikê xwe** (kendi) kabuğuna çekilmek ~ **kirin quncekî telandin** köşeye sinmek ~ **kirin reşê (yekî)** kendine ... süsü vermek ~ **kirin rê** yola koyulmak ~ **kirin rûnê ser nan** kendini sevdirmek ~ **kirin şorbeşîra ber nexweşan** süslenip püslenmek (kadınlar için) ~ **kirin şûna kiroxan** alıcı kılığına girmek ~ **kirin sîperê** siperlenmek ~ **kirin weka pirê** *sp* köprü kurmak ~ **kişandin hev** büzüşmek ~ **kur û kem kirin** (kendi) saçını başını yolmak ~ **kureve kirin (yekî)** ardılmak, sırtına asılmak ~ **kutan ber devê (yekî)** (birinin) burnuna girmek ~ **lewitandin** **1)** kendini batırmak **2)** işi yüzüne gözüne bulaştırmak ~ **lê dananîn** oralı olmamak (veya oralı bile olmamak) ~ **lê kirin xweyî** saphiplenmek ~ **lê nekirin xweyî** **1)** oralı olmamak (veya oralı bile olmamak) **2)** görmezlikten gelmek ~ **li avê xistin** suya vurmak ~ **li (wî) alî nekirin xweyî** o taraflı olmamak ~ **li ber (...) girtin** dayanmak (yetişmek, yeter olmak) * **nan xwe li ber zarokan nagire** ekmek çocuklara dayanmıyor ~ **li ber (...) negirtin** dayanmamak ~ **li ber qaleyê bi rêz kirin** *sp* baraj kurmak (veya yapmak) ~ **li berê ker kirin** kulak kesilmek ~ **li berê pehn kirin** kurulmak (sofraya rahatça oturmak) * **xwe wisan li ber xwarinê pehn kiribû qet mepirse** yemeğe öyle kurulmuştu ki hiç sorma ~ **li berê xweş kirin** **1)** (herhangi bir şeye) kurulmak **2)** kurulmak (sofraya rahatça oturmak) * **xwe li ber xwarinê xweş kir** yemeğe kuruldu ~ **li bêdengiyê danîn** kendini sessizliğe vermek ~ **li bêfehmiyê danîn** anlamazlıktan gelmek ~ **li bihurê (yekî) xistin** (birine) nazı geçmek ~ **li (yekî) danîn** yüzüne gülmek (dostluk göstermek, alakalanmak) ~ **li deng girtin** sesi takip etmek ~ **li dengê (yekî) girtin** (birinin) sesi takip etmek ~ **li dînîtiyê** (an jî **dîniktiyê) danîn** kendini deliliğe vurmak ~ **li eksê danîn** inata binmek ~ **li erdê pehn kirin** serilip serpilmek, serilip yatmak ~ **li erdê raxistin** serilip serpilmek ~ **li (yekî) girtin** eteğine yapışmak (veya sığınmak) ~ **li ingê danîn** inadı tutmak ~ **li ker û laliyê danîn** kendini sağırlığa vurmak (veya vermek) ~ **keregêjiyê danîn** kendini aptallığa vurmak ~ **li keriyê danîn** **1)** kendini sağırlığa vermek, kendini duymamazlığa vermek **2)** duymamazlıktan gelmek, oralarda olmamak, o taraflı olmamak ~ **li kerî danîn** **1)** kendini sağırlığa vermek, kendini duymamazlığa vermek **2)** sesini çıkarmamak ~ **li kerîtiyê** (an jî **kerîtî) danîn** **1)** kendini sağırlığa vermek, kendini duymamazlığa vermek **2)** duymamazlıktan gelmek, oralarda olmamak **3)** kendini pişkinliğe vurmak ~ **li kêlek quraftin** bel kırmak ~ **li kubariyê danîn** kırılıp dökülmek (kibar görünmeye çalışmak) ~ **li mêraniyê danîn** erkeklenmek ~ **li nazikiyê danîn** kırılıp dökülmek (kibar görünmeye çalışmak) ~ **li nebihîstinê** (an jî **nesehkirinê) danîn** işitmemezlikten gelmek ~ **li nedîtinê danîn** **1)** görmezlikten gelmek, görmezden gelmek **2)** (bir şeye) gözünü yummak ~ **li nexweşînê danîn** hastalık taslamak ~ **li nezaniyê danîn** **1)** kendini cahilliğe vurmak **2)** bilmezlikten gelmek **3)** kendini dirhem dirhem satmak (çok nazlı davranmak) ~ **li pêş neynikê şûtik û lehtik kirin** (ayna önünde) süslenip püslenmek ~ **li piyan girtin** **1)** ayakta durmak **2)** basmak **(küçük çocuklar için** ayakta durabilmek) ~ **li qubedetiyê danîn** kabadayılık taslamak ~ **li ser kêlekê avêtin** yanlamak (keyfince yaşamak) ~ **li ser lingan girtin** basmak (küçük çocuklar için ayakta durabilmek) ~ **li ser siya piştê avêtin** yan gelip yatmak, pineklemek ~ **li serê hûr kirin** (birine) toz kondurmamak ~ **li serê neqaîl kirin** (birine) toz kondurmamak ~ **li serê kuştin** (birine) toz kondurmamak ~ **li tiştan werkirin** balıklama atlamak (bir işe, duruma veya harekete sonucunu düşünmeden girişmek) ~ **li tiştên mezin qirase kirin** büyük oynamak (büyük bir tehlikeyi göze alarak bir işe girişmek) ~ **li vî alî li wî alî quraftin** bel kırmak, salına salına gitmek ~ **li xanıî danîn** bilmezlikten gelmek ~ **li xewa kêrgoşkan danîn** tavşan uykusuna yatmak **(roviyê fenek e)** ~ **li xewê danîn** til-

ki uykusuna yatmak ~ **makyaj kirin** makyajlanmak ~ **mebehicîne!** patlama! ~ **melûsankî kirin** ezilip büzülmek ~ **nas dike** kendini bilen (veya bilir) ~ **mezin hesibandin** (kendini) dev aynasında görmek ~ **mezin kirin** (kendini) dev aynasında görmek ~ **nedan berê** -den kaçınmak ~ **nedan zorê** (an jî **zehmetê**) sıkıntıya gelememek **(yek)** ~ **nedîtin** ne olduğunu bilememek ~ **nespartin tiştekî** (bir şeye) yüzü olmamak (bir şeye dayanamamak) ~ **nîşan dan 1)** kendini göstermek **2)** boy göstermek * **xwe piçek da nîşan dan û çû** gelip biraz boy gösterip gitti hat **3)** yoklamak (ara sıra etkisini göstermek) * **li gorî ku ez derman jî dixwim, dîsa jî êşa min xwe nîşan dide** ilaç aldığım halde ağrılarım yine beni yokluyor **4)** sivrilmek ~ **... nîşan dan** (kendine veya herhangi bir şeye) ... süsü vermek ~ **nû kirin 1)** kendini yenilemek **2)** çulu düzmek veya düzeltmek (giyim kuşamını yenilemek) ~ **paqij xweyî kirin** kılığına çeki düzen vermek ~ **pê de rûçikandin** varını yoğunu birine vermek, sahiplenmek **pê mijûl kirin** -e oyalanmak, eğlenmek, eğleşmek ~ **pê papo kirin** -e oyalanmak ~ **pê re gihandin** yardımına koşmak ~ **pêşan dan** gövde gösterisi yapmak ~ **pihêt girtin** sıkı durmak ~ **pir mezin dîtin** kendini dev aynasında görmek ~ **qet tune kirin** kendini hiçleştirmek ~ **quncifandin ser hev** ezilip büzülmek, büzülüp oturmak (veya kalmak) ~ **qure qure kirin** kurum kurum kurumlanmak (veya kurulmak) ~ **qurus kirin** avucuyla su içmek için eğilmek ~ **radest** (an jî **teslîm**) **kirin** teslim olmak ~ **ranegirtin stêrk kirin xwarê** göz yaşlarına engel olamamak (veya yaşlarını tutamamak) ~ **rihet kirin** içini dökmek, rahatlamak ~ **seriyek hesab kirin** kendini bir şey sanmak ~ **serwer** (an jî **zal**) **kirin** kendini eğemen kılmak ~ **serxweş kirin** kafayı tütsülemek ~ **spartin (...)** -e yaslanmak, dayanmak ~ **spartin (cihekî)** kaynağını almak * **rayeyeke ku xwe naspêre qanûnan** kaynağını yasadan almayan bir yetki ~ **spartin (yekî) 1)** (birine) sığınmak **2)** (birine) teslim olmak **3)** yaslanmak, dayanmak ~ **şaş nekirin** soğuk kanlılığını bozmamak, tetiğini bozmamak ~ **şidand** tabana (veya tabanlara) kuvvet ~ **şidandin 1)** kendini kasmak **2)** tabana (veya tabanlara) kuvvet kaçmak ~ **tenya kirin** halvet olmak ~ **tev mede!** davranma!, kımıldama! ~ **tê re avêtin** -den atlamak (yüksek yerden alçak yere kendini bırakmak) * **xwe di pencereyê re avêt** pencereden atladı ~ **tê re berî xwarê dan** -den atlamak (yüksek yerden alçak yere kendini bırakmak) * **xwe di pencereyê re berî xwarê da** pencereden atladı ~ **tiştek hesab kirin** (an jî **hesibandin**) kendini birşey saymak ~ **vala kirin** boşalmak, içini dökmek, rahatlamak ~ **vede!** savul! ~ **vir de wir de kirin 1)** kıvırıp durmak **2)** kıvırmak (uydurup söylemek) ~ **vir de û wir de nedan** kıvırmama ~ **wekî term dirêj kirin** leş gibi serilmek ~ **winda kir** açtı ağzını yumdu gözünü ~ **winda kirin 1)** kendini kaybetmek **2)** dünyayı gözü görmemek (ölçülü davranamamak) ~ **wê de bide!** (an jî **bidin**) savul! (veya savulun!) ~ **xistin ber çavê (yekî)** (birinin) damarına girmek ~ ~ **xwarin** kendi kendini yemek (veya kendini yemek) ~ **xweş firotin** kendini satmak (kendisinde olmayan iyi nitelikleri varmış gibi göstermek) ~ **ya li mêrekî çê ya jî li çiyayekî asê bigirin** ya yiğit mert birine ya da geçit vermez bir dağa sığının ~ **zal kirin** kendini eğemen kılmak ~ **zana kirin** derinleşmek (bilgisini genişletmek) ~ **zane** kendini bilen (veya bilir) ~ **zerî (yekî) kirin** (birinin) üstüneveya üzerine atlamak

**xwealastin** *m* yalanma, yalanış

**xwe alastin** *l/gh* yalanmak

**xweamadekirin** *mbw* **1.** hazırlanma, kendini hazırlama **2.** davranma (bir işi yapmaya hazır olma, hazırlanma)

**xwe amade kirin** *l/bw* **1.** hazırlanmak, kendini hazırlamak **2.** davranmak (bir işi yapmaya hazır olmak, hazırlanmak)

**xweanîn** *m* kendini ifade etme

**xwe anîn** *l/gh* kendini ifade etmek

**xwe aqilmend dîtin** *l/bw* akıllı geçinmek

**xwearastin** *m* bezenme, donanma, süslenme

**xwe arastin** *l/gh* bezenmek, donanmak, süslenmek

**xwearastî** *rd* bezenik, donanmış, süslenmiş

**xweavêtin** *m* **1.** kendini atma, atlama (belli bir yükseklikte aşırma)**2.** atılma **3.** *sp*dalış, plonjon **~a bi çetiran 1)** paraşüt ile atlama (paraşüt kuesinde atlama) **2)** *lşk* paraşüt ile atlama (taktik amaçlarla belli bir bölgeye havadan inme veya bir tehlikeden kurtulmak için uçaktan paraşütle atlama) **a bi dar** *sp* sırıkla atlama **~a bi nîze** *sp* sırıkla atlama

**xwe avêtin** *l/gh* **1.** kendini atmak, atlamak (belli bir yükseklikte aşırmak) **2.** atılmak **3.** atlanılmak * **ji cihekî ev çend bilind mirov xwe navêje** bu kadar yükseklikten atlanılmaz

**xweavêtî** *rd* kendini atmış, atlanmış olan

**xwebadan** *m* **1.** kıvırma (kalçalarını iki yana sallayarak oynama veya yürüme) **2.** süzülme (uyumlu ve salınarak yürüme)

**xwe ba dan** *l/bw* **1.** kıvırmak (kalçalarını iki yana sallayarak oynamak veya yürümek) **2.** süzülmek (uyumlu ve salınarak yürümek)

**xwebadayîn** *m* **1.** kıvırış (kalçalarını iki yana sallayarak oynama veya yürüme) **2.** süzülüş (uyumlu ve salınarak yürüme)

**xwebalastin** *m* **1.** yalanış, yalanma **2.** karşı cinse ilgi duymaya başlayan bir kimse kendisine çeki düzen vermeye başlama
**xwe balastin** *l/gh* **1.** yalanmak **2.** karşı cinse ilgi duymaya başlayan bir kimse kendisine çeki düzen vermeye başlamak
**xwe banyo kirin** *l/bw* banyo yapmak
**xwebawer** *rd* kendine güvenen
**xwebawerî** *m* öz güven
**xwe belek kirin** *l/bw* **1.** kendini belli etmek **2.** ortaya çıkmak
**xwebengî** *rd* kendine âşık
**xweber** *rd* kendiliğinden, otomatik (insan için; irade dışında yapılan davranış)
**xweberî** *m* kendiliğindenlik, otomatiklik
**xweberda** *nd/rd* hovarda
**xweberdan** *m* **1.** süzülme, süzülüş (kuş için; havada lerleme) **2.** kendini salma, vidaları gevşeme **3.** (cinsel) organını dikleme **4.** yalan atma
**xwe berdan** *l/bw* **1.** süzülmek (kuş için; havada lerlemek) **2.** kendini salmak, vidaları gevşemek **3.** (cinsel) organını diklemek **4.** yalan atmak
**xweberdatî** *m* hovardalık
**xweberevanî** *m* öz savunma, kendini savunma
**xwe berhev kirin** *l/bw* toparlanmak
**xwe berojk kirin** *l/bw* güneşlemek, güneşlenmek
**xweberhêvotî** *m* öz öğrenimli
**xweberî** *m* öz devim, otomasyon
**xweberîbûn** *m* otomatikleşme
**xweberî bûn** *l/ngh* otomatikleşmek
**xwebertî** *m* öz devinim, otomatizm
**xwebexşandîbûn** *bj/nd* öz bağışıklık
**xwebexşîn** *m* kendini feda etme, kendini adama
**xwebexşkirin** *m* kendini feda etme
**xwe bexş kirin** *l/bw* kendini feda etmek
**xwebêçekkirin** *m* silâhsızlanma
**xwe bêçek kirin** *l/bw* silâhsızlanmak
**xwebêçekkirî** *rd* silâhsızlanmış olan
**xwebêj** *m* anlam, mana
**xwebêjî** *rd* anlamsal
**xwebêsîlehkirin** *m* silâhsızlanma
**xwe bêsîleh kirin** *l/bw* silâhsızlanmak
**xwebêsîlehkirî** *rd* silâhsızlanmış olan
**xwebiçekkirin** *m* silâhlanma
**xwe bi çek kirin** *l/bw* silâhlanmak
**xwe bi çepeve kirin** *l/bw* **1.** sapmak, yolunu değiştirmek **2.** birilere görünmemek için yolunu değiştirmek
**xwe bi dest re berdan** *l/bw* teslim olmak (bir kadın bir erkeğe kendini vermek)
**xwebidestreberdayî** *rd* teslim olmuş olan (bir kadın bir erkeğe kendini vermiş olma)
**xwe bi kar û bar kirin** *l/bw* hazırlanmak, hazırlık yapmak
**xwe bi keramet kirin** *l/bw* keramette bulunmak
**xwebikeyskirin** *m* **1.** kendine çeki düzen verme **2.** toparlanma **3.** kendini toparlama, kendini toplama (herhangi bir konuda eskiden kötü olan durumunu düzeltme)
**xwe bi keys kirin** *l/bw* **1.** kendine çeki düzen vermek **2.** toparlanmak **3.** kendini toparlamak, kendini toplamak (herhangi bir konuda eskiden kötü olan durumunu düzeltmek)
**xwe bi paş ve kişandin** *l/bw* geri çekilmek
**xwe bi ser de dadan** *l/bw* abanmak
**xwe bi ser hev de dan** *l/bw* sıkışmak (yer açmak için)
**xwe bi serî kirin** *l/bw* yuva kurmak, evlenmek
**xwe bi xwe** *h* **1.** kendi kendine (bir kimseyle dayanışmaksızın, ilgisi, ilişkisi olmadan) * **mirovek xwe bi xwe dikare li serê çiya bijî?** bir kimse kendi kendine dağ başında yaşayabilir mi? **2.** kendi kendine (yalnız başına) **3.** kendi kendine (başkasının ortaklığı ve yardımı olmadan) * **em dê xwe bi xwe biparêzin** biz kendi kendimizi koruyacağız **4.** kendi kendine (kendiliğinden) ~ **berî nava xwe dan** kendi kendini yemek (veya kendini yemek) * **xwe bi xwe berî nava xwe dabû û gotibû ez dê çawa ji binê vî qerzî derkevim** borcun altından nasıl kalkacağım diye kendi kendini yiyip durmuştu
**xwebixwetî** *m* kendi kendiliğindenlik
**xwebizdobadokirin** *m* kırıtma, kıvrıla kıvrıla yürüme
**xwe bizdobado kirin** *l/bw* kırıtmak, kıvrıla kıvrıla yürümek
**xwebîn** *rd* bencil, egoist ~ **bûn** bencil olmak
**xwebînbûn** *m* bencilleşme, bencil olma
**xwebîn bûn** *l/ngh* bencilleşmek, bencil olmak
**xwebînbûyîn** *m* bencilleşiş, bencil oluş
**xwebînî** *m* bencillik ~ **kirin** bencillik etmek
**xwebînkî** *h* bencilce
**xweboyaxkirin** *m* boyanma, makyajlanma
**xwe boyax kirin** *l/bw* boyanmak, makyajlanmak
**xwebûlkirin** *m* domalma
**xwe bûl kirin** *l/bw* domalmak
**xwebûlkirî** *rd* domalmış vaziyette
**xwebûn** *m* **1.** kendi olma **2.** benlik, özlük, kendi olma **3.** *rd* bağımsız
**xwe bûn** *l/ngh* kendi olmak
**xwebûnî** *fel/m* kendilik
**xwecarîkirin** *m* durulanma
**xwe carî kirin** *l/bw* durulanmak
**xwecemidandin** *m* üşütme (soğuk alma, üşüyüp hasta olma)
**xwe cemidandin** *l/gh* üşütmek (soğuk almak, üşüyüp hasta olmak)
**xwecih** *rd/nd* **1.** yerli (oturduğu bölgede doğup büyüyen, ataları da orada yaşamış olan kimse) **2.** *rd* yerli (taşınmayan, başka bir yere götürülmeyen) * **dolaba xwecih** yerli dolap **3.** yerleşik, mütemekkin (bir yerin yerlisi olmuş) **4.** *nd* sakin (bir yerde oturan kimse, sekene)

**xwecihî** *rd* yerli (belli bir bölgede yetişen) * **mêweya xwecihî** yerli meyve
**xwecihîbûn** *m* yerlileşme
**xwecihî bûn** *l/ngh* yerlileşmek
**xwecivandin** *m* **1.** toplanma **2.** toparlanma
**xwe civandin** *l/gh* **1.** toplanma **2.** toparlanmak
**xwecî** *bnr* xwecih
**xweçemandin** *m* bükünme
**xwe çemandin** *l/gh* bükünmek
**xweçengkirin** *m* üzerine atlama
**xwe çeng kirin** *l/bw* üzerine atlamak * **ji lepra ji cih xwe çeng kirê** aniden yerinden üzerine atladı
**xweçerixandin** *m* çark çevirme
**xwe çerixandin** *l/gh* çark çevirmek
**xweçerxkirin** *m* çark çevirme
**xwe çerx kirin** *l/bw* çark çevirmek
**xweçêkirin** *m* süslenip püslenme, makyaj yapma
**xwe çêkirin** *l/gh* süslenip püslenmek, makyaj yapmak
**xweçijî** *m* aşırı sinirlenme
**xweçirandin** *m* yırtınma, yırtınış (çok çaba sarfetmek)
**xwe çirandin** *l/gh* yırtınmak (çok çaba sarfetmek)
**xweçivandin** *m* bükünme
**xwe çivandin** *l/gh* bükünmek
**xweçivçivandin** *m* kıvırma (yan çizme)
**xwe çivçivandin** *l/gh* kıvırmak, yan çizmek
**Xweda** *n* **1.** Allah, Tanrı, Yaradan **2.** *b* Allah, Allahım! ~ **nehebandin** yadsımak, Allah'ı tanımamak ~**yê (yekî) li seriya me ye** Allah var (veya Allahı var) * **Xwedayê wê li seriya me ye ew karekî wiha nake** Allah var, böyle bir işi o yapmaz
**xwedabanû** *m* tanrıça
**xwedaber** *m/argo* yosma, sürtük
**xwedadan** *m* kayma, kayak yapma
**xwe dadan** *l/gh* kaymak, kayak yapmak
**xwe dadan bi ser de** *l/bw* -e abanmak
**xwedadar** *rd* inanç sahibi
**xwedahebîn** *rd* Yaradancı, teist, Allaha inanan
**xwedahebînî** *fel/m* Yaradancılık, teizm
**xwedahî** *bnr* xwedayî
**xwedakirin (I)** *m* tanrılaştırma
**xwedakirin (II)** *m* **1.** kendini atma, atlama **2.** kayak yapma
**xwe dakirin** *l/gh* **1.** kendini atmak, atlamak **2.** kayak yapmak
**xwedalastin** *m* yalanma, yalanış
**xwe dalastin** *l/gh* yalanmak
**-xwedan** *rz/m* önek olarak kullanılır * *xwedan*mal mal sahibi
**Xwedan (I)** *n* Rab, Allah
**xwedan (II)** *nd/nt* **1.** sahip, iye, malik (herhangi bir şey üstünde mülkiyeti olan) **2.** sahip, ehil (herhangi bir niteliği olan kimse) **3.** sahip (bir iş yapmış, üstlenmiş veya bir eser ortaya koymuş kimse) **4.** sahip (koruyan, arka çıkan, gözeten kimse) ~ **ezmûn** (an jî **tecrûbe) bûn** tecrübesi olmak ~**ê sebrê mîrê Misrê** sabreden derviş muradına ermiş ~**ê xêrê 1)** hayır sahibi **2)** hayırsever
**xwedan** *m* kendini verme
**xwe dan** *l/gh* kendini vermek
**xwe dan alî** *l/bw* **1.** çekilmek (kendini geri veya yana çekmek) * **ji navê xwe bide alî** aradan çekil **2.** göze görünmemek (ortaya çıkmamak, sortalıkta dolaşmamak, saklanmak) **3.** savulmak, kaçılmak * **xwe bidin alî, erebe tê** kaçılın, araba geliyor **4.** köşeye sinmek
**xwedanas** *nd/nt* tanrı bilimci
**xwedanasî** *m* tanrı bilimi
**xwe dan banî** *l/bw* yukarı tarafa çekilmek
**xwe dan belayê** *l/bw* belâ aramak, belâsını aramak
**xwe dan ber** *l/bw* **1.** (bir şeyi) kabul etmek, yanaşmak **2.** sorumluluk almak **3.** (bir şeyi) üstlenmek
**xwe dan ber baran** *l/bw* yardım etmek, yardımcı olmaya çalışmak
**xwe dan ber bayê** *l/bw* rüzgârlanmak
**xwe dan ber bêhna hev** *l/bw* birbirinin ağız kokusunu çekmek
**xwe dan ber hev** *l/bw* ölçüşmek (boy bakımında ölçüşmek) * **were em xwe bidin ber hev, kî dirêj e, kî kin e dê xuya bibe** gel ölçüşelim, kim uzun kim kısa belli olur
**xwe dan berdan** *l/bw* kendini boşatmak
**xwe dan berê** *l/bw* **1.** yanı başında durmak, nöbet tutmak **2.** yanaşmak **3.** ön ayak olmak
**xwedanbext** *rd* baht sahibi
**xwedanbûn** *m* **1.** iyesi olma, sahip olma **2.** iyelik, sahiplik
**xwedan bûn** *l/ngh* iyesi olmak, sahip olmak
**xwedanbûn** *m* iyelik, sahiplik
**xwe dan der** *l/bw* **1.** kendini belli etmek, ortaya çıkmak **2.** oluşmak, tezahür etmek
**xwedanderî** *m* **1.** kendini belli etme, ortaya çıkma **2.** oluşma, tezahür
**xwedaneber** *m* **1.** (bir şeyi) kabul etme, yanaşma **2.** sorumluluk alma **3.** (bir şeyi) üstlenme
**xwedanê xêrê** *rd/nt* **1.** hayır sahibi **2.** hayırsever
**xwedanfazîlet** *rd* fazilet sahibi, faziletli
**xwe dan fêzan** *l/bw* kibirlenmek
**xwedanhesp** *rd* **1.** at sahibi **2.** atlı
**xwe dan hev** *l/bw* **1.** toparlanmak **2.** toplanmak, kendini toparlamak (kendine çeki düzen vermek) * **hema dima ku min bigota, lê car din min xwe dida hev** söyler gibi oluyordum, sonra kendimi topluyordum **3.** kendini toparlamak, kendini toplamak (herhangi bir konuda eskiden kötü olan durumunu düzeltmek) **4.** toparlanmak (ekonomik durumunu düzeltmek) **5.** toparlanmak, hazırola geçmek **6.** güç birliğine varmak **7.** kapanmak (kendini kapatmak)
**xwedaniya hevbeşî** *nd* ortak mülkiyet

**xwedanî (I)** *m* sahiplik, maliklik
**xwedanî (II)** *m* hakaniyet
**xwedanîn (I)** *m* 1. kendini (kapıp) koyu verme 2. kendini dine verme
**xwedanîn (II)** *m* 1. alçalma (yüksekten aşağıya doğru inme) 2. konma (kuş, kelebek, uçak vb. için, bir yere inme) 3. iniş yapma
**xwe danîn (I)** *l/gh* 1. kendini (kapıp) koyu vermek * **piştî ku pê hisiya keçik zewiciye, ji jiyanê sar bû û xwe danî** kızın evlendiğini duyduktan sonra hayattan soğudu, kendini koyu verdi 2. kendini dine vermek
**xwe danîn (II)** *l/gh* 1. alçalmak (yüksekten aşağıya doğru inmek) * **çivîk geh bilind dibû û geh jî xwe datanî** kuş bir yükselip bir alçalıyordu 2. konmak (kuş, kelebek, uçak vb. için, bir yere inmek) 3. iniş yapmak
**xwe danîna li nebihîstinê** *nd* işitmezlik
**xwe danîna li nesehkirinê** *nd* işitmezlik
**xwedankesatî** *rd* kişilik sahibi, kişilikli
**xwedankirin** *m* besleme
**xwedan kirin** *l/gh* beslemek
**xwedankitêb** *rd* kitap sahibi, semavî dinlerden birine mensup olan
**xwedankur** *rd* erkek çocuk sahibi
**xwe dan mistdan** *l/lb* kendini ovalatmak
**xwe dan nîşan** *l/bw* 1. kendini göstermek 2. varlık göstermek
**xwe dan nîşandan** *l/bw* 1. kendini göstermek 2. kendini göstermek * **bêdeng nemînin, ca xwe bidin nîşandan** haydin susmayın, kendinizi gösterin bakalım
**xwe dan paçkirin** *l/lb* öptürmek
**xwedanparêz** *nd/nt* Allaha inanan
**xwe dan paş** *l/bw* geri çekilmek, arkaya çekilmek
**xwedanperest** *fel/nd* teist
**xwedanperestî** *fel/m* teizm
**xwe dan pêş** *l/bw* öne atılmak
**xwe dan pişt** *l/bw* arka çıkmak
**xwe dan qiyaleyê** *l/bw* gölgelenmek (hayvanlar için, gölgede kendini dinlendirmek)
**xwedanqudret** *rd* kudret sahibi
**xwe dan qunc** *l/bw* (bir) köşeye çekilmek
**xwe dan ramûsandin** *l/lb* öptürmek
**xwe dan revê** *l/bw* kaçmaya yeltenmek
**xwe dan rê** *l/bw* yola koyulmak
**xwedanrêz** *rd* hatırı sayılır (kimse) ~ **û îhtiram** hatırı sayılır
**xwedansebir** *rd* sabırlı
**xwe dan serê** *l/bw* sıkı çalışmak, asılmak,
**xwedan sêwîk** *rd* üçüzlü
**xwe dan siyê** *l/bw* gölgelenmek
**xwedansoz** *rd* sözünün eri
**xwedanşeref** *rd* şeref sahibi, şerefli, onurlu
**xwe dan tavê** *l/bw* güneşlemek, güneşlenmek
**xwe dan tenahiyê** *l/bw* inzivaya çekilmek
**xwe dan tenêhiyê** *l/bw* izdivaya çekilmek
**xwedanuma** *rd* Allahı gösteren
**xwedanxêr** *nd* 1. hayır sahibi 2. hayır sever
**xwedanxêrbûn** *m* sevap kazanma
**xwedanxêr bûn** *l/gh* sevap kazanmak
**xwedanxêrî** *m* 1. hayır sahipliği 2. hayırseverlik
**xwedanxîret** *rd* gayret sahibi
**xwedanyatî** *m* sahiplik
**xwedanzarok** *rd* çocuk sahibi
**xwedanzewq** *rd* ehlizevk
**xwedaparêz** *nd/nt* Tanrı tanır, Allaha inanan
**xwedaparêzî** *m* Allaha inanma
**xwedaperest** *rd* yaradancı, teist, tanrı tanır
**xwedaperestî** *m* yaradancılık, teizm
**xwedatî** *m* 1. tanrılık, ulûhiyet 2. hakaniyet
**xwedawend** *n* 1. ilâh 2. *m* ilâhe, tanrıça
**xwedawendbûn** *m* ilâhlaşma
**xwedaweşandin** *m* silkinme (üstünü silkme)
**xwe daweşandin** *l/gh* silkinmek (üstünü silkmek)
**Xwedawo** *b* Allah!, Allahım! * **Xwedawo ev çi ye hatiye serê me?** Allahım bu nedir başımıza gelen?
**xwedayetî** *m* tanrıcılık
**xwedayî** *rd* 1. ilâhî, tanrısal, lâhutî 2. haklı * **gotineke xwedayî** haklı bir söz 3. *rd/nd* hakperest, haksever 4. *m* hakkaniyet * **divê mirov riya xwedahiyê bernede** insan hakkaniyetten ayrılmamalı 5. *h* hakkça
**xwedayîtî** *m* 1. tanrısallık 2. ulûhiyet 3. hakseverlik
**xwedbîn** *rd* hodbin, bencil
**xwedbînî** *m* hodbinlik, bencillik
**xweder** *m* 1. doğa, tabiat 2. doğa, tabiat (insan eliyle büyük değişikliğe uğramamış, doğal güzelliklerini koruyan, genellikle şehir dışı kesim) 3. *rd* özgün, orijinal
**xwederî** *rd* 1. doğal, tabiî 2. doğal (tabiatın düzenine ve gereklerine uygun) 3. doğal (kendiliğinden, insan eliyle yapılmamış)
**xwe derman kirin** *l/bw* 1. ilâçlanmak, dermanlar sürünmek 2. boyanmak, makyajlanmak
**xwedestî** *rd* sunî, yapay, yapma
**xwe deşarj kirin** *l/bw* boşalmak (derdini, sıkıntısını birine anlatarak ferahlamak)
**Xwedê** *n* 1. Allah; Tanrı, Yaradan 2. *mec* Allah (bazı isim tamlamalarında geçer) * **tiralê Xwedê** Alahın tembeli * **gayê Xwedê** Allahın öküzü 3. *b* Allah, Allahım ~ **agah** Allah bilir ~ **alîkariyê bi (...) bike** Allah selâmet versin (yolda güçlük içinde bulunanlara iyi dilek sözü olarak söylenir) ~ **ava bike** 1) ziyade olsun 2) teşekürler ~ **ayîkan nahêle** ah yerde kalmaz ~ **ayîkê (yekî) jê stendin** ahı çıkmak ~ **bedena te hêşîn (an jî ter) bike** Allah sana bir evlât nasip eylesin ~ **bela xwe bidê** Allah belâsını versin ~ **bereketa Xelîl Îbrahîm bide** Allah Halil İbrahim bereketi versin ~ **bereketa xwe bike emrê te** (an jî we) ömrüne bereket ~ **bereketa xwe bike emrê wan** sürüsüne bereket ~

**berekata xwe bikê** (an jî **têkê**) 1) Allah (bin bir) bereket versin, Allah bereket versin 2) Allah ziyade etsin ~ **bereketa xwe têkê** sürüsüne bereket ~ **bextê te bi reş bike** Allah bahtını karartsın ~ **bextê wê spî bike** Allah bahtından güldürsün ~ **bi destê wî re anîn** Allah işini rast getirmek ~ **bi (yekî) re be** Allah yardımcısı olsun ~ **bi pî û baskê we re be** Allah size yardımcı olsun ~ **(yekî) bi rehma xwe şad bike** 1) Allah gani gani rahmet eylesin 2) Allah rahmet eylesin ~ **bi te de bibarîne** Allah sana gani gani versin ~ **bi xêr bigerîne** 1) Allah hayırlı etsin (veya kılsın) 2) Allah kabul etsin ~ **bide** 1) Allah versin (iyi bir şey geçirenlere memnuniyet bildirmek için, bazen de takılma ve şaka için söylenir) 2) Allah versin (dilenciyi savmak için söylenir) ~ **bibe qebûlê** Allah kabul etsin ~ **bibexişîne** Allah bağışlasın ~ **bibêje herê** Allah yardım eder, terslik çıkmazsa ~ **bide** Allah versin ~ **bigihîne ruhê (yekî)** canına değmek * **Xwedê bigihîne ruhê bavê te** babanın canına değsin ~ **bihêle** Allah bağışlasın ~ **bike qismet** Allah kısmet ederse ~ **bikim** Allah vere de * **Xwedê bikim, baran nebare!** Allah vere de, yağmur yağmasa! ~ **bikim zêdeyî nekeve mala te** soyun sopun kurusun ~ **bila qehra xwe li wan bike** Allah hepsini kahretsin ~ **bimbarek bike** Allah mübarek etsin ~ **(...) bistîne** Allah canını alsın ~ **bistrîne** 1) Allah esirgesin (korusun veya saklasın) 2) maazallah ~ **bixefirîne** 1) Allah bağışlasın 2) maazallah ~ **canê sax bide** ecel aman verirse ~ **canê (yekî) stendin** (an jî **girtin**) Allah canını almak ~ **canê te bistîne** Allah canını alsın ~ **carekê jê re gotiye ê** Allah yürü ya kulum demiş ~ **çavê me nede destê tu kesî** Allah sağ gözü (veya eli) sol göze (veya ele) muhtaç etmesin ~ **çawan kiribe awayê Wî ye** 1) Allahın dediği olur 2) oluruna bırakmak ~ **çawan kiribe weka Xwedê ye** ölüm Allah'ın emri (tehlike anında "ölümü bile göze alıyorum, ölümden korkmuyorum" söylenen söz) ~ **çêkirin** yoluna girmek * **meraq neke wê xwedê çêke** merak etme her şey yoluna girecek ~ **çêtir zane** Allah daha iyisini bilir ~ **çi çêkiribe weka Wî ye** iş olacağına varır ~ **çi kiribû nisîb** Allah ne verdiyse ~ **çiya dibîne berfê lê dibarîne** (an jî **berfê dide serê**) 1) Allah dağına göre kar verir 2) Allah müstahakkını verir ~ **da ser** emrihak vaki olmak ~ **(yek) dan** doğmak ~ **dawiya vî (wî) bi xêr bigerîne** Allah sonunu hayır etsin ~ **daye, bi kêla heq daye** Allah ziyadesiyle vermiş ~ **daye nesîb jî pê re ye** ağılda oğlak doğsa ovada ot biter ~ **daye Xwedê bihêle** Allah bağışlasın ~ **derd dane derman jî dane** Allah dert vermiş dermanını da ~ **derd daye derman jî pê re** Allah dert vermiş dermanını da beraber vermiş ~ **derd nade ser dar û deviyan, dide ser însanan** dert insana mahsustur ~ **derdan nîşan nedê** Allah acısını unutturmasın ~ **derdan nîşanê (te) mede** Allah dert göstermesin ~ **derdan nîşanî we mede** ellerin dert görmesin ~ **derê rehmê lê veke** acil şifalar dilemek ~ **deriyek vekirin yek girtin** hayır da şer de Allahtandır ~ **dê û bav ji serî kêm neke** Allah dört gözden ayırmasın ~ **dost be** Allah yardım eder, terslik çıkmazsa ~ **du tiştan bi hev re nade feqîran; ku yekê dide yê din jî distîne** Allah ne yaptığını şüphesiz en iyi bilendir ~ **dûrî (yekî) dan** yaka ısırmak ~ **ef û mexfûret bike** 1) Allah taksiratını affetsin 2) toprağı bol olsun ~ **(yekî) efû bike** Allah taksiratını affetsin ~ **emanetê xwe jê stendin** (an jî **xwestin**) canını almak, ruhunu almak ~ **emr nedan (yekî)** ömrü vefa etmemek ~ **emrekî dirêj dan** ömrü vefa etmek ~ **emrê (yekî) bi ser emrê (yekî din) bixe** sizlere ömür ~ **emrê dirêj bide** 1) Allah uzun ömürler versin 2) Allah gecinden versin 3) ecel aman verirse ~ **emrê te dirêj bide** 1) Allah uzun ömürler versin 2) dünya dukça durasın ~ **emrên dirêj bide** Allah ömürler versin ~ **êdî pê zanibe bê çi qas e** ne kadar olduğunu artık Allah bilir ~ **hafiz** *b* allaha ısmarladık ~ **heq şahid e** 1) Allah seni (veya sizi) inandırsın 2) Allah şahittir, Allah şahidim olsun ~ **heye** Allah var (veya Allahı var) * **Xwedê heye, ew karekî wiha nake** Allah var, böyle bir işi o yapmaz ~ **heqan bi heq dike** Allah kimseye kimsenin hakkını yedirmez ~ **heqan li vê dinyayê safî dike** hak yerini bulur (veya hak yerde kalmaz) ~ **heqan nahêle** hak yerini bulur (veya hak yerde kalmaz) ~ **heqilevd e** hak yerini bulur (veya hak yerde kalmaz) ~ **heye xem tuneye, mirin heye rev tuneye** Allah var gam yok, ölüm hakktır kaçış yok ~ **hez bike** 1) Allah kısmet ederse 2) Allah yardım eder, terslik çıkmazsa 3) Allahın izniyle ~ **hezar salî bike** Allah bağışlasın ~ **hinekî din jî bidê** Allah daha fazlasını versin ~ **hiş û aqil bide** Allah akıl fıkir versin (veya Allah akıllar versin) ~ **hifz û muhafize bike** Allah esirgesin (veya saklasın) ~ **hifza (me) jê bike** üstüme iyilik sağlık (üstüne, üstünüze sağlık, üstüne sağlık veya üstünüze şifâlar) ~ **hifza me ji wan bike** iyi saatte olsunlar (cin ve perilerden söz edilirken kullanılır) ~ **îşê te li hev bîne!** rastgele!, pazar ola! ~ **îşê we li hev bîne!** rastgele! ~ **jê razî** mübarek (kızılan, şaşılan kimse veya şeyler için şaka yolu ile söylenir) ~ **jê razî be** 1) Allah kendisinden razı olsun, Allah hoşnut olsun 2) Allah selâmet versin (birinden pek yana ol-

